*Ji Bexçê Dilan*

# JI EXLAQÊ NIMÛNEYÎ YÊ
# DOSÊN HEQ 1

Osman Nûri TOPBAŞ



WEŞANÊN ERQEM

Ji Bexçê Dilan

JI EXLAQÊ NIMÛNEYÎ YÊ

# DOSTÊN HEQ 1

Osman Nûrî TOPBAŞ

| | |
|---|---|
| **Navê Resen:** | Hak Dostlarının Örnek Ahlakından 1 |
| **Nivîser:** | Osman Nûrî TOPBAŞ |
| **Wergêr:** | Mehmet Seyhan<br>[Mela Muhemmedê Bêrkevanî] |
| **Rastker** | Abdusselam Kartal<br>[Mela Ebdusselamê Bêcirmanî] |
| **Qordînator:** | Muhammed Davuthan Kılıç |
| **Grafiker:** | Ahmet Taha Bilgin |
| **ISBN:** | 978-9944-83-885-6 |
| **Navnîşan:** | Ikitelli Organize Sanayi Bölgesi Mah.<br>Atatürk Bulvarı, Haseyad 1. Kısım<br>No: 60/3-C Başakşehir,<br>Istanbul, Turkey |
| **Tel:** | (+90-212) 671-0700 pbx |
| **Fax:** | (+90-212) 671-0748 |
| **E-mail:** | info@islamicpublishing.org |
| **Malpera We bê:** | www.islamicpublishing.org |
| **Sertifika çapê:** | Weşanên Erqem |
| **Language:** | Kurdish |

WEŞANÊN ERQEM

# NAVEROK

# PÊŞGOTIN

Hemd û senayên bêdawî ji Ellah Teala re bin!; Ewê ku bêhijmar mexlûqat ji tinebûnê anîne hebûnê ku hemû sermayê wan ji "hîçbûn"ê îbaret e;

Ewê ku em meccanen, yanî digel ku me hîç ti hemberek (bedelek) nedaye jî ji navbera hemû aferîndeyên bêhijmar lutf li me kiriye, em kirine eşrefê mexlûqatan û em wek "însan" aferandine;

Ewê ku bi kitêb û pêğemberên ku wek rêberên hîdayetê şandine jî berê îstîqameta me daye ser heq û xêrê;

Ewê ku bi têgihaya alim û arif warisên pêğember in jî berdewamîya bêdawîya silsîleya îrşada manewî lutf kiriye;

Ewê ku em bendeyên bêçare yên xwe bi neşwe û hizûra îmanê kirine merzûq.

Selat û selamên bêdawî her li ser Mezinê me Fexrê Kaînatê Hezretê Mûhemmed Mûstefa û Ehlê Beyta Wî û Eshabê Wî bin!;

Ewê ku însanîyet ji tarîtîya bêîmanî û cehaletê rizgar kiriye û bûye wesîle ji bo ew di nav nûra seadeta ebedî de noq bibe;

Ewê ku bi sifetê xwe «رَحْمَةً لِلْعَالَمِينَ» (Rehmeten lîlalemîn) bi rûhê xwe ji bo alemê merhemet, şefqet û rehm tewzî (belav) kiriye;

Ewê ku li dinyayê şexsîyetê nimûneyî yê bêemsal e, mezintirîn mûallim, terbîyekar û rêberê me ye;

Ewê ku li Uqbayê jî şefaetçîyê me ye.

Xwendevanên mûhterem ên me;

Me gotarên xwe yên ku di “**Kovara Altinoluk**” a me de bi serlewheya (sernivîsa) “Ji bexçê dil” wek mehane dihatin weşandin dubare di ber çavan re derbas kirin û di hinek navberên demê de dixistin kitêb û ji bo îstîfadeya we xwendevanên giranbiha yên xwe pêşkêş dikirin.

Bi vî awayî heta vêga me bi van navan “**Muhabbetteki Sır, Son Nefes, Saadet Damlaları, Öyle Bir Rahmet ki**” silsîleya eserên xwe weşandibûn, bi lutfa Rebbê me îlaweyeke din li wan jî bû nesîbê me.

Hîç guman nîn e ku di her qad û xusûsê de di xizmeta rêya Heq de îhtiyac bi wan berhem û kitêban heye ku sipehîtahî, zarafet û ziravîyên Îslamê ji dilan re biguhêzin. Nexasim di qada manewîyatê de… Lewra îro, li dinyayê birçîbûnîya manewî û têrnexwarîya rûhî gihaye sefheyeke zirweyî ya wisan ku êdî xwe li temamê dinyayê pêçaye û ew xistiye ber xwe. Ji lewma lizûma ku divê mirov rewacê û dilê xwe bide ser xizmetên dînî û manewî, heqîqeteke dipdîyar e.

Ji vî cîhetî ve; zerûrî ye ku mirov meleke û qabilîyetên îdraka aqilî û qelbî yên ku Xuda ji mirovî re lutf kirine û hemû nîmetên wekî can, mal û zemanî di rast û îstîqameta rizaya îlahî de bikarbîne û ji bo xwe bixe sermayê axretê.

Di çarçoveya vê zerûretê de yek ji mezintirîn xizmetên ku mirov dikare ji Îslamê re bike ev e; mirov hewl bide wê bi awayê ku **eshabê kîram** û **dostên Xuda** ew fehm kirine û jîyane wisan wê îdrak bike û mirov karibe hewl bike wê, di rewşeke mûkemmelîyeta hemû pevre de wek îtîqad, îbadet, mûamelat û exlaq di heyata xwe de bijî.. Bi vî awayî mirov dê karibe bi maneyeke kamil dilekî mûmîn û huwîyet û nasnameyeke Îslamî şanî bide.

Lêbelê ji bo mirov karibe wê nasnamê û wî dilî şanî bide jî, helbet şertê yekê ev e; mirov karibe wesfên wan, xusûsîyetên wan, sipehîtahîyên wan û destûrên bilind ên wan zanibe ka ew çi ne.

Bi nîyeta ku çendan piçeke hindik be jî em karibin bibin wesîle ji bo bicihkirina vê, ev rêze-nivîsa ku me bi navê "Ji Exlaqê Nimûneyî yê Dostên Heq" li qelem da û heta zimanê me gerîyabe me hewl daye ku em sipehîtahîyên dînê bilindê xwe Îslamê yên wekî nezaket, zarafet, ziravî, riqqeta qelbî, letafet û hessasîyetên serekeyî yên ku Îslamê xwestiye wan bigihîne me, me jî ew ji heyata mezinên Îslamê berhev kirine û ew îfade kirine. Di vê meydanê de ev kitêba li ber destê we, cilda yekema berhema me pêktîne. Nivîsên me yên ku wê cilda duyema wê pêkbîne jî di Kovara me Altinolukê de berdewam dikin. Ew jî înşaellah wê rêzenivîsa "Ji Exlaqê Nimûneyî yê Dostên Heq" wek pirtûka duyem ji bo îstîfadeya we xwendevanên me were pêşkêşkirin.

Divê em ji bîr nekin ku însan bi exlaqê xwe dibe "**însan**". Endazên exlaqî jî di navbera mexlûqatan de bes ji bo însanî tenê ne. Bi vê sedemê ew kesê ku ji kemala exlaqî mehrûm be, çendan ew di şeklê xwe de însan xuya bibe jî di heqîqetê de ew ji çendîn mexlûqatan bêhtir ketiye sewîyekeke nizmtir, temenê xwe zîyan kiriye û şeref û heysîyeta xwe jidest daye. Ji lewma ew sirra ku însanî dike însan, wî bi cewhera eslî ya wî re dide naskirin û di encamê de wî digihîne sifetê "şerefdartirînê heyberan" jî ew "**exlaqê xweş**" e ku jîyîna di zemîna îmaneke bi evîn û eşq de ji xwe re neşw û nemayê dibîne û heyrantîyê dide rûhan..

Bingeha exlaqê xweş jî di her xusûsê de rîayetkirina "**edeb**"ê ye. Edeb, tescîla însanîyeta me ye. Ew her wekî bêhna gulekê ye ku dilan keyfxweş dike. Îcab dike ku ew bêhna xweş bi awayekî sipehî di tevna dilê mûmînî de nifûz bike û ew di her sefha (pêvajoya)

heyata wî de were hiskirin. Ev rewş, di heman demê de ji bo kemala îmana wî jî elamet e.

Çawa **Hezretê Mewlana** jî ku wek berdevkê dostên Heq e, wiha dibêje:

"*Aqilê min ji qelbê min pirs kir, jê re got: «Îman çi ye?» Qelbê min jî xwe bi ber guhê min ve tewand û jê re got: «Îman ji edebê îbaret e!*»"

Her prensîpeke dînê bilind ê me Îslamê, menzûmeyeke sipehî-tahîyên exlaqî ye ku ew ji xuyabûna îmanê di heyatê de îbaret e. Mezinê me Pêğember gotiye:

"*Ez hatime şandin ji bo exlaqê xweş temam bikim.*" [1]

Ji lewma her hal û hereketa alim û arifên ku warisên Pêğember in jî, ji bo me talîmeke exlaqê xweş e. Çawa gellek pîre-mezinên manewîyatê tesewwuf, "**ji exlaqê xweş û edebê îbaret**" dîtine. Wan îfade kiriye, gotiye; dersa pêşîna tesewwufê "ne êşandin" e, dersa paşîna wê jî "nehatin êşîn" e.

Dostên Heq, ji bo mirovên ku bi şerefa dîtina Hezretê Pêğember û eshabê wî negihane, şexsîyetên zirweyî ne ku divê ew nimûne werin girtin. Ew îrşad û nesîhetên ku bi zimanê rehmê yên wan dilan îhya dikin, di mahîyeta şevnemên (jale û xwîsîtîyên) rûhanîyetê de ne, ku di esasê xwe de ji serkehnîya Nebewî zenzilîne û hatine.

Lewra ew dostên Heq, ên alim, arif, salih û (exlaq û îman) kamil in ku karîne di rêya zuhd û teqwayê de bi qelbê xwe merhelan qut bikin û bigihîjin mûkemmelîyeta reftar û bizavan; îdrak û îhate'ya xwe ji bo ufûqê herdu cîhanan fereh kirine, bi lezzeta îmanê û kûrahîya hestan gihane; hemû ğeyret û hewldanên wan ji

1. Mûwetta, Husnû'-Xulq, 8.

bo vê hedefê ne ku karibin însanîyetê ji hal û hereketên menfî û nefsê ji xwedğemîya wê xilas bikin û wê bigihînin exlaqê ulwî, yanî karibin wê ber bi kamilbûna manewî û zirweya fezîletê ve bibin û bilind bikin.

Ew dostên Heq in ku di piştî wicûda (bedena) fanî ya xwe de jî nabin mazî (kevin û dembûrî), di dilên hezkirîyê xwe de her dijîn û ew li ser (kirina) îrşadên xwe jî berdewam dibin. Lewra Cenabê Heq, ji wan bendeyên xwe hez kiriye û hezkirina wan ji bo dilên nesîbdar lutf kiriye.

Xuda Teala ferman dike, dibêje:

“**Herçî ewên ku îman anîne û amelên salih kirine, Xuda ê ku ji bo wan zehf bi merhemet e, wê** (di dilên wan) **de hezkirinekê biaferîne**.”[2]

Hezkirinek...

Hezkirina sağtirîn.. Mehebbeteke dilî ya wisa ye ku wekî meğnetîsekê gellek dilan bi alîyê xwe ve dikişîne.

Heke mûhasebe-kirinek pêwîst be, ma ji bo mirov vê xusûsê fehm bike hijmara wan zîyaretçîyên ku rojane têne serdana tibên Şahê Neqşîbendîyan, Mewlana’yan, Yûnusan û Hûdayî’yan ne mîsaleke kafî ye?

Ev qisse, ji bo wê heqîqetê çi îfadeyeke xweş e:

Xelîfê Ebbasîyan **Harûn Reşîd** di nav îhtîşam û seltenetê de li Reqqayê îqamet dikir. Rojekê Hezretê **Ebdûllah bin Mûbarek** hate wê derê. Xelkê bajêr hemû çûn derveyî bajêr ji bo pêşwazîyê li wî bikin. Hema bibêje; Xelîfe bi tena serê xwe li nav bajêr mabû.

2. Meryem, 19/96.

Carîyekeke Harûn Reşîd ev dîmen ji balkonê seyr dikir. Dema wê pirs kir, got;

"-Ev çi ye? Çi dibe?" Mirovên li wir hazir jê re gotin;

"-Alimek ji Xurasanê hatiye. Navê wî Ebdûllah bin Mûbarek e. Xelk pêşwazîyê li wî dike."

Vêca wê carîyê jî got:

"-Ha siltantîya rastî ev e, ne siltantîya Harûn e! Lewra di siltantîya Harûn de heke polîs nebin, heta karker jî nikarin li deverekê kom bibin."

Siltantîya rastî ev e... Lewra seltenetên maddî, bivê-nevê ewê rojekê her xilas bibin û herin nemanê. Lêbelê selteneta manewî, di piştî mirina xwe de jî bi heman îhtîşama xwe dewam dike. Însanîyet her tim îhtiyacê bi wan siltanên dilan dibîne, li wan digere û li ser rêç û şopa mûbareka wan bazdide diçe. Ha sebebê hesret û elaqa ku bi sed salan e ji bo kehnîya mehebbeta lîsanê dilî yê Ebdûlqadirê Geylanî, Behauddîn Neqşîbend, Yûnus Emre, Mewlana û dostên Heq ên wekî wan tê hiskirin jî ev e.

Sirrê vê selteneta ulwî jî hîç guman nîn e ku mehebbet û cazîbeya manewî ya dostên Heq e. Ji bilî vê jî ew wesfên mûstena ne ku di wan şexsîyetên mezin de hene. Ew jî wiha ye:

Dostên Heq di fena fir-Resûl de, yanî di mehebbeta Resûlûllah de hizûr û aramî dîtine û têde fanî bûne, ew ji ber hewa û hewesên nefsa xwe napeyvin. Ew her wekî neyê ne, ji ber ku wan alema navxweyî ya xwe ji her tiştên ku wan ji Heq dûr dikin vala kiriye, hemû deng û sedayên îrşadê ku ji wan tên bihîstin hisseyek ji nefesa pêğembera ye ku wan bi xwe exlaqê wan enbîya ji bo xwe kiriye exlaq.. Qelbên wan di mahîyeta ayneyeke berraq û tertemîz de ye ku nûrên Heq û heqîqetê têde xuya dibin. Bi îfadeya nebewî:

“.. *Cenabê Heq ji bo wan bûye ew guhê wan ê ku pê dibihîzin, ew çavê wan ê ku pê dibînin, ew destê wan ê ku pê werdigrin, ew lingê wan ê ku pê birêve diçin, ew qelbê wan ê ku pê aql dikin û ew zimanê wan ê ku pê diaxivin..*” [3]

Alema dilî ya wan ji bo navên cemalî yên Cenabê Heq tecellîgeheke mûstesna ye. Navên Rebbê me “Rehman” û “Rehîm” ên ku zehf zêde di Qur’ana Pîroz de têne dubarekirin di sûretê merhemeteke wisan berfereh de di dilên wan de tecellî bûne ku li ser hemû mexlûqatan şamil werin û wan tevan bidin ber xwe. Terzê nêrîna, bi nezara şefqet û merhemeta Xaliq meyzandina li mexlûqatan ji bo wan bûye destûra heyatê..

Dema kevir li **Hellacê Mensûr** dihatin barandin, wî digot:

“- Ya Rebbî! Pêşî mirovên ku keviran li min dibarînin efû bike, paşê jî min efû bike.”

Lewra wan dostên Heq, pareke xwe ji sifetê «الْعَفْو» Efwê Cenabê Heq, wate ji efûkarîya wî wergirtiye û ev efûkarî ji bo xwe kirine tebîetê eslî.

Hezretê **Hatemê Esam**, li cemê zîyaretçîyek bê hemdê xwe dengekî ne xweş û bilind derxistibû. Vêca ji bo xwediyê wî dengî mehcûb nebe, şerm neke û neêşe mideteke dirêj wekî ku guhên wî hindik dibihîzin wilo jîyabû. Ji lewma leqeba “esam/kerr, hindik dibihîze” li wî hatiye kirin. Lewra wî ev sifetê Cenabê Heq “settarû’l-uyûb” yanî eyb-veşêr bi şexsîyeta xwe ve mezc kiriye û heyateke her wekî ku tecellîgeheke mûstesna ya vî îsmê cemalî be, wisan jîyaye.

**Hezretê Mewlana Celaleddînê Rûmî** jî ji bo îmanê mûnadîyekî (banghildêrekî) heqîqî bû û ji bo hemû însanîyetê şirîkê derdan û

3. Li Buxarî, Rîqaq, 38’an binêrin.

tebîbê dila ye. *Mesnewî* ya wî ku dawetnameya wî ya ji hikmet û sirrên îlahî tije ye, ji heftsed salan ve tazebûna xwe ji bo îrşadê mûhafeze dike. Hezretê Mewlana ji bo xwe pareke mûstesna ji navê cemalî yê Cenabê Heq wergirtiye û ev hal ê ku wî şanî daye jî çi qeder bi hikmet e:

Rojekê Hezretê Mewlana di navbera awirên bizdihayî yên her kesî de xwe xistibû hewzê cuzamdaran (kotîyan/gurîyan), wî ew bendeyên mûzderîb ên Xuda xistibûn ber çeng û perên merhemet û şefqeta xwe û ew ji hêla maneyî ve tedawî û tesellî kiribûn. Lewra alema dilî ya wî dostê Heq, bi nezara şefqeta Xaliq li hemû mexlûqatan dimeyzand, ew bûbû her wekî merkeza rehabîlîteyeke manewî ku temamê însanîyetê têde hizûr û şîfa didît.

**Hezretê Behauddîn Naqşîbend** jî di salên pêşîn ên întîsaba xwe de ji bo însanên xeste û mûzderîb û heywanên bêxwedî û birîndar xizmet kiriye. Wî heta rêyên ku însan tê re diçûn temîz kirine û wî heyateke heft salan a xizmetê jîyaye ku di vê xusûsê de ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wî. Wî halê "**hîçbûn**"a xwe yê ku di dilê wî de gihabû zirwê wiha bi van malikên xwe anîye zimên:

*Alem genim, ez ka me,*
*Alem ciwan, ez yeman...*

Dîsa wî îfade kiriye ku ew di esnaya van xizmetan de gihaye mezintirîn fiyûzatên manewî.

**Hezretê Ebû-henîfe**, ji bo wî li gorî keyfa xelîfê di serê îqtîdarê de îctîhad nekiriye, Meqamê Qazîtîya Beğdadê red kiriye û ji bo xwe zîndan tercîh kiriye. Bi vî awayî ew, ji bo bicihkirin û belavkirina heq û edaletê bûye nimûneyeke bariz, ya ku heke çendan bihayê wê di ber de fedakirina heyata xwe be jî.

**Hezretê Ehmed bin Henbel** jî li hemberî mûnaqeşa "Qur'an mexlûq e, yan ne mexlûq e?" razî bûye ku zulm lê bibe û ew bikeve zîndanê lêbelê dîsa wî ji îctîhada xwe tewîz nedaye.

**Welhasil;** di bara celadet û zarafeta îmanê de ev mîsal hemû, ji bo exlaqê wan bendeyên bextiyar ên ku ji dostanîya Heq û nêzîkbûna wî re bûne mezher û ew ji dehşet û huzna mehşerê hatine azadkirin bes çend nimûne ji mîsalên bêjimar in.

Heke em jî, ji welîyan ku dostên hezkirî yên Heq in hez bikin, heke em li axretê heşrbûna bi wan re arzû bikin, naxwe divê em hewl bidin ji bo para xwe ji exlaqê xweş ê wan bigrin. Lewra ji bo me wesîla seadeta ebedî ev e; em halê xwe tim û daîm bi halê wan mîzan bikin, biwezinînin, em wan ji bo xwe bikin qistaseke fiêlî û em hewl bidin ji bo para xwe ji tevna dilî ya wan bigrin.

Ha ev in ew heqîqetên ku me hewl daye, em bi vê esera acizane ya li ber destê we, vebêjin. Heke bi kurtî îfadekirina wan pêwîst be, ew mijarên ku meqaleyên di nav kitêbê de wan di nav xwe de dihewînin, bi kurtî wiha ne:

Di alema beşerîyetê de zirweya exlaqê xweş; nezaket, letafet û zarafetê Mezinê me Hezretê Pêğember e. Hemû fezîlet û sipehîtahî di şexsîyeta nimûneyî ya bêemsala wî de mewcûd û meknûz in. Alema dilî ya wî, her wekî bexçekekî cennetê ye ku ew ji çîçekên nadîde, zirav û zarîf û gulên bêhnxweş hatiye pêkanîn. Dostên Heq, ên ku warisên Pêğember in jî di mesabeya bayê sebayê (bahorê) de ne, ku ji wî bexçê cennetê tê, dibare. Ji bo me jî ya mûhîm ev e; em karibin di jîyana xwe de rêya rast û durusta ku bi wî bexçê cennetê ve diçe, bibînin. Ji bo vê zerûrî ye ku em jî wekî dostên Heq "**bi qelbê xwe Hz. Pêğember nas bikin**".. Lewra heta em ji dinyaya dilî ya wî waqif nebin, ne mûmkin e ku em karibin sade bi malûmatên kronolojîk ên sîyerê wî nas bikin.

Hemû sipehîtahîyên exlaqî yên ku li vê alemê di zemîna îmanê de neşw û nema dîtine, ji tewzî-bûna (belavbûna) exlaqê nebewî yê di însanîyetê de îbaret e.. Ji bo vê ye ku heta em para xwe ji tevna rûhanî ya Mezinê xwe Hezretê Pêğember wernegirin û heta em wî bi çavê dil nexwînin ne mûmkin e, em karibin heyateke meqbûla evdînîyê bijîn.

Ev cîhan dersxaneyeke îmanê ye. Em jî li vir in, ji bo tehsîleke manewî bibînin. Hemû mesele ev e; em bigihîjin kemala manewî, em karibin bi bawername û şehadetnameyeke îlahî ya ku Rebbê me jê razî, deftera emrê xwe îkmal bikin.

Di vê tehsîla manewî de dersa ku divê pêşî were hînkirin "**Tewazû**" ye ku «عِبَادُ الرَّحْمَنِ» tewazû ev e, mirov karibe bibe evdekî ku rehma Rehman têde tecellî bûbe. Lewra heta mirov nebe xwediyê vê qiwama dilî ya ku kakila evdînîya ji bo Heq jî teşkîl dike, hemû amelên ku tên kirin li cem Heq, ji bo qebûlê şayan (layiq) nabe. Heke evd kirasê tewazûyê li xwe bike, Cenabê Heq bi rehma xwe dorê lê digre û wî bilind dike.

Ji lewma şertê pêşî ji bo derbasbûna di wî derîyê ku ji bo keş û hewaya dostanîya Heq vedibe, terk-kirina îddîaya hebûn û ezperestîya di qelb de ye û li xwe kirina kirasê tewazûyê ye. Lewra hemû ajar û nîmetên maddî û manewî ji lutfa wî ne. Ezperestî jî ji bo heyata manewî cûre pençeşêrek e.

Dîsa em di vê dersxaneya îmanê de ne. Di vê dersxanê de "**Sebr û Tehemmula li hemberî Cahil û Nezanan**" wek cilwe û nazîyeke îmtîhanê derdikeve pêşîya rêwîyên Heq. Wek cure berx-wedêrîyekê sedaqet, teslîmîyet û halê rizaya wan tê ceribandin. Bendeyên arif ên xwedî besîret, li çi cure xirabîyê rast werin, bi awayê "**Mûqabele-kirina Xirabîyê Bi Qencîyê**" tehsîla manewîya xwe bi mûweffeqîyet îkmal dikin.

Îmaneke kamil, di rêya çûna cem Heq de di nav îdraka hunerê jibîrkirina gileh û şîkayetê de hîç ti zemanekî emareyên bêzarbûnî û westinê şanî nade. Ew bi ti awayan rûyê xwe tirş nake. Ew hemû derd û îzdîraban di dilê xwe de vedişêre. Ew di her hal û karî de di çehreya xwe de bi “**Tebessum**”eke şîrîn rûkenîya Îslamê şanî dide. Lewra dînê bilind ê me Îslam, ji vî serî heta bi wî serî ji endazên “**Edeb û Nezaketê**” îbaret e. Çênabe ku însanek hem bibêje; ez dîndar im, hem jî ew hov, bernebuhêr û bê nezaket be.

Endazên Qur’an û Sunnetê her hal û hereketa mûmînên kamil ji rabûna wan bigre heta bi rûniştina wan, ji rêveçûna wan bigre heta bi kenê wan tevan dîyar dikin. Belkû bizava beşerî ya me ya ku her divê di pêşîya hemû bizavên me de bi van endazan werin pîvan, axaftin, wate îfadeya bi peyvê, tê. Lewra axaftin wekî ayneyeke berraq e ku sewîya aqilî û qelbî ya însên û rewşa îmanî û exlaqî ya wî şanî dide. Bi vê sebebê ji bo mirov xwe ji afetên zimanî biparêze û karibe bi lîsanê rehmê biaxive, zerûrî ye ku mirov wê “**Uslûba Axaftinê ya ku Qur’anê Telqîn kiriye û Ew Daye Hînkirin**” zanibe.

Li alîyê din fêkîyên îmanê yên pêşîn şefqet û merhemet e. Naxwe mirov bi dilekî ji şefqet û merhemetê bênesîb nikare bigihîje rehma Heq. Siriştîtirîn û tebîîtirîn encama ‘ji bo xatirê Aferînerî şefqet û merhemet-kirina li aferîndeyan’ jî “**Comerdî û înfaq**” e. Lewra divê mûmîn, wekî bahora ku tê mûşfiq, wekî barana ku dibare jî comerd be. Divê ew di her an û demê de hizûr, rehm û bereketê ji derdorên xwe re bexş bike û bi vî awayî li rizaya Heq bigere. Wate bila ew “**Edebên Înfaqê**” rîayet bike û di rewşa îkram û îhsaneke xwezayî de be. Bila dayende (ewê ku dide) bi edaya teşekkurê ji wergirî re malê xwe bide. Bila bi awayekî taybetî îtînayê şanî bide ji bo hewcedarî neêşîne. Bila xwe ji rîya û zerqekarîyê, ji îsraf û nemerdîyê biparêze. Di rewşeke berevajî vê de wî

qaîdeyê “**Di Înfaqê de Îxlas**”ê binpê kiriye û wî amelên xwe zayî kirine.

Zirweya comerdî û înfaqa ku bi rîayetkirina qaîdeyên edeb û nezaketê hatibin îfakirin jî rewşa “**Îsar**”ê ye. Îsar, fezîleteke ji evdên Heq, welîyan re xas e. Îsar ev e; digel ku îhtiyaca mirovî pê hebe jî dîsa mirov karibe heqekî, yan jî îmkanekî ji bo birayekî dîtir ê xwe yê mûmîn dewr bike. Di her halûkarî de mirov pêşî hizûr û seadeta bira-dînê xwe bihizire û karibe di şûna “pêşî ez” de “pêşî tu” yan jî “pêşî ew” bibêje.

Ji bilî vê jî şeref û qîmetê xêrekê, ev e; mirov bê dereng-xistin wê tam di wextê wê de bike. Naxwe îmkaneke ku di dema lazimbûna wê de peyda nebe, çawa ew ti qîmetekî îfade nake, eynî wisan di wê dema bira-dînê mirov di zor û tengîyê de be jî nebûna li cem wî, yan di dema îmkan hebe de îhmalkarî şanîdan, yan dereng xistina wê xêra ku divê di rêya Xuda de were kirin yan jî texîr-kirina wê webalekî giran e..  Lewra mechûl e, nayê zanîn ka zeman wê çi bi xwe re bîne. Bi vê sebebê, hê firsend ji dest mirov neçûyî zerûrî ye ku mirov “**Di Xêrê de Lezê Bike**”..

Li alîyê din, dînê bilind ê me Îslamê, hiqûqê “**Biratî**”yeke wisan anîye ku ew di tarîxa dinyayê de nehatiye dîtin. Wate Îslamê, mûmîn ji hev re kirine bira, ew li ser hev û din zimmet kirine û derdê bira-dînê xwe ji xwe re bi derd-kirin jî kiriye mesûlîyeteke uxrewî.

Li gorî vê divê mûmîn, karibe hemû bira-dînên xwe bixe seraya dilê xwe. Divê ew di keş û hewaya mehebbetê de bi wan re bibe dostekî semîmî û jidil, ew bi keyfxweşîyên wan keyfxweş bibe û di zemanê zor ê wan de jî ji wan re bibe serkehnîya hedan-anîn û tesellîyê û (bi vê bicihanîna mesûlîyeta xwe jî) di nav hizûra wijdanî de bijî. Bi kurtî; bi awayekî layiq bicihanîna vê berpirsîya ku em dikarin jê re “**Îhyakirina Biratîyê**” bibêjin, ew mûmînan ji bo

riza'ya Heq û ji bo vê îltîfata Mezinê me Resûlûllah "*birayên min*" dike mezher. Di vê xusûsê de bi bihaneyên şeytanî û nefsanî mehel û cih dana ğeydan û dilmanan di nêrîna Îslamê de curmekî zehf giran hatiye jimartin. Îstihqar û îstixfafa bira-dînekî jî di mesabeya jehrekê de ye ku ew pijiqiye nav alema dil.

Li alîyê din li vê cîhanê di evdînîya ji bo Heq de mûhîmtirîn sermayê me mehebbet e. Berê mehebbeta xwe dana wî yê layiqê wê, mezintirîn wesîla qezenca manewî ye. Dijberê vê, zîyankirina mehebbeta xwe di hezkirina wî yê ne layiqê wê de jî sebebê felaketeke ebedî ye.

Ew mehebbetên ku layiqê xwe nabînin, îsrafên hezîn ên heyata fanî ne. Ew mehebbetên mûbtezel û di nav neperûşkên menfîetên jirêzê de mabin jî dişibihin wan çîçekên ku di kenarê tibaran (peyarêyan) de bel dibin. Vêca çi zû be çi jî dereng be, her ewê werin perçiqandin û mehûkirin. Ew pirlanta'ya ku ketibe kolanê çi qeder bêşens e! Bi neheqî mal-bûna ji bo destekî ne layiq jî çi zîyaneke hezîn e!

Li vê alemê her tişt bi ziddê xwe qaîm e. Ji ber ku ziddê mehebbetê jî nefret e, naxwe nefret-kirina ji mirovên ku Xuda ji wan hez nake jî ji bo hezkirina ji Xuda endazeke tebîî ye. Ewê ku ji îmanê hez bike, divê ew ji kufrê nefret bike; ewê ku ji xêr û sewabê hez bike, divê ew ji guneh û şeran nefret bike. Bi vê sebebê zerûrî ye ku mirov ji bo "**Mehebbet û Buğza ji bo Xuda**" bibe xwedî. Divê xerca bingehîna îmana me, ev be; "*Mehebbeta ji bo yê layiqê wê be û nefret-kirina ji yê mûsteheqê wê be!*"

Mehebbeteke ku mirov ji ziddê wê nefret neke, nuqsan e, ji ciddîyet û semîmîyetê dûr e. "**Semîmîyeta di Mehebbet û Buğzê de**" jî ev e; mirov hîç bi ti awayekî tewîzê ji mehebbeta Xuda nede, mirov bi ti awayan meyla xwe nede ser tiştên ku ğezeba Xuda li

mirovî dibarînin û heta mirov karibe ji bo Xuda bertekekê şanî bide..

Ew mûmînê ku zanibe ev cîhan alema îmtîhanê ye û ew bi şiûra "**Jibîrnekirina Fanîbûn**" a xwe bijî, bihayê wê çi dibe bila bibe, ew ji bo menfîetên dinyewî û nefsanî îstîqameta xwe xirab nake. Ew seadeteke ebedî ji bo sewdayên berwext ên dinyaya fanî zayî nake. Ew bi leyelanan naxape. Ew dilê xwe bi leystokên dinyaya fanî ve girênade. Ew qezenceke uxrewî bi hîç zewqeke dinyewî naguherîne. Ew tim û daîm "**Axretê li ser dinyayê tercîh**" dike. Ew hewl dide ku nîmet û îmkanên dinyewî ji bo seadeta ebedî ya li axretê bike sermaye.

Bi kurtî; ew emrekî temam di nav heyata teqwayê de dijî. Ev heyata teqwayê jî bendeyî ji Heq re dike dost.

**Xwendevanên giranbiha yên me**:

Ji bo mirov karibe ji Heq re bibe dost, heyata teqwayê ku ji çendîn ziravî û sirran tije ye, ew bi awayekî sipehîtirîn û mûkemmel di heyata dostên Heq de hatiye raxistin. Ew, di dostanîya ji bo Heq de ji me re şexsîyetên nimûneyî ne. Nexasim bi îtîbara exlaqên xwe yên evdînîyê nimûneyên mûstesna ne.

Heke em karibin bi awayekî layiq ji wan nimûneyan îstîfade bikin, ji me re helal be!

Di ronahîya vê îstîfade-kirinê de; bi qasî em karibin hessasîyetên lazim ji bo heyateke evdînî ya ku Heq jê razî dibe bi îxlas û semîmîyet di her an û her qada heyata xwe de berfereh û gelemper bikin, -înşaellah- Rebbê me, wê tiştên ku em nizanibin jî bi me bide hînkirin û ewê fîraset û besîreteke wisan ji dilê me re bexş bike ku em karibin bi wan heqîyê ji şerê û rastîyê ji şaşîyê veqetînin..

Çawa Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**... Ji Xuda bitirsin** (li ser teqwayê bibin!) **û** (zanibin ku) **Xuda** (tişta hûn nizanin jî) **li we dide hînkirin!.**.” [4]

Ev jî heqîqetek e ku wekî hemû berheman, ev berhema naçîzane ya me ya li ber destê we jî, heqîqetên ku wê di nav xwe de hewandine bi qasî ku ew ji bo xwe heyatê di dilan de bibînin, ewê bi meqsûda xwe bigihin. Di vê xusûsê de em xwe diavêjin ber lutf û înayeta Rebbê xwe.

**Heq Teala ji keş û hewaya maneyî ya eshabê kîram û ewlîyaûllah ên ku di “sîrata mûsteqîm” de ji bo hemû mûmînan rêber in nesîbên ulwî ji dilên me re bexş bike! Ji rûhanîyetên fereh ên wan şevnemên feyyaz ji bo dilên me îhsan bike!**

**Amîn!..**

Osman Nûrî TOPBAŞ
Tîrmeh 2009
Uskudar/Îstanbûl

4. Beqere, 2/282.



# *Bi Qelbê Xwe Hezretê Pêğember Naskirin*

*Gul, sembola Mezinê me Hezretê Pêğember e. Mûhîmtirîn tehsîl di vê dersxaneya heyatê de ev e;*

*Mirov karibe Wî Şahê Gulan nas bike,*

*Mirov karibe ji bêhna mûbareka Wî gulî û ji tevna rûhanî ya wî nesîbê xwe wergire,*

*Mirov karibe bibe daneyeke şevnemê ji pelên Wî gulî...*

*Dema mûmînek, li hemberî Wî gulê gulan ji kûrahîya dilê xwe hest bi hisên manewî, heyecan û lerzeyan bike û destpê bike para xwe ji tevna dilê wî wergire, hingê ew di wê rê de ye ku êdî bi wî re hev-aynî bibe û lezzetê ji mehebbeta wî bistîne..*

# BI QELBÊ XWE HEZRETÊ PÊĞEMBER NASKIRIN

Derwêşek ji zatekî arif dipirse:

“-Gelo Hezretê **Cuneydê Beğdadî** mezintir e, yan jî Hezretê **Bayezîdê Bistamî** mezintir e?”

Ew zat vê bersivê dide:

“-Ji bo mirov karibe mezinbûna fezîletê di navbera van herdu welîyan de tayîn bike, divê mirov welîyekî ji herduyan jî mezintir be..” [5]

Yanî ji bo mirov karibe bi awayekî tam asoya fezîleta dostên Xuda fehm bike, ne karê destdana îdraka ye. Di wê dema ku îdraka beşerî di bara qedr pê-dana evdên Xuda welîyan de jî bêçare bin de, gelo çi qeder ewê karibin qedr û qîmetê hebîbê Xuda tayîn û texmîn bike?..

Gelo hemû kitêbên sîretê ku bi peyvên mehdûd hatine nivîsandin, karîne çend di çendan de heqîqeta Mûhemmedî îfade bikin?! Ji vê jî zêdetir her qelema ku rabûye wî vebêje jî, kariye bes bi îfadeyeke ku bi qasî rêjeya mehebbeta di dilê xwediyê xwe de wî vebêje...

5. Ehmed Eflakî, Menaqîbû’l-Arifîn, II, 225.

## ÎNTÎSABA MANEWÎ YA BÊDAWÎ

Dema rojekê **Mewlana Celaleddînê Rûmî** bi telebeyên xwe re sohbet dikir **Şemsê Tebrîzî**, bi meqseda îmtîhan-kirina wî bi heyecaneke ğerîb vê sûala acayîb jê dipirse:

“-Hezretê Bayezîdê Bistamî mezintir e, yan jî Hezretê Mûhemmed Mûstefa mezintir e?”

Mewlana Celaleddîn dikeve dehşetê û bi hiddet dibêje:

“-Ev çi sûaleke acayîb e?! Ma ew Pêğemberê bilind ê ku wek rehm ji bo aleman hatiye şandin û welîyekî ku hemû sermayê manewî yê wî tabîbûna wî ye û feyzên dilê xwe jî ji wî distîne çawa li hev têne qiyaskirin?!”

Şemsê Tebrîzî, sikûneta xwe xirab nekir û sûala xwe bi vî şeklî eşkere kir:

“-Naxwe çima Bayezîd, ji Rebbê xwe dixwaze wî bixe cehennemê û bedena ew qeder mezin bike heta ku li wir ji bo ti gunehkarekî cih nemîne. Lêbelê tam ziddê vê li hemberî tecellîyeke biçûka îlahî jî gotiye; «şanê min çi bilind e! Ez xwe pak didêrim!...» Hezretê Pêğember jî digel tecellîyên bêjimar jî xwe di mahwîyeteke mezin de dibîne, bi dereceyên ulwî ku bi wan gihaye bes nake, ji Rebbê xwe re di nav hemd û şukrê de nêzîkbûna ji wî arzû dikir, daîm dixwest, dixwest, tim û daîm her dixwest?..”

Ev îzah, Mewlana Celaleddîn tîne li sînorê îlmê zahirî yê ku sirf aqilî ew rohnî kiriye, qerase dike. Heke mirov di vê nuqtê de bimîne, ne mûmkin e, karibe bersiva wê sûalê bide. Şems, bi teser-rufatîya manewî wî ji vê nuqtê bipêşvetir li ser îstîqametê sabit dike. Lewra mawera’ya (bi wêdetira) alema zahirî “alemeke ledun”îya bê serî û bê binî ye. Bi vî awayî Şems, mûxatebê xwe bi leza birûskê

ber bi kûrahîya asoya manewî ve derxiste seyaheta keşfekê ku digel ew têde mewcûd bû jî lêbelê ew bi xwe jê bêxeber bû.

Bi vê tesîra ji nişkayî ve Hezretê Mewlana wekî ku yek ji mûtalaayên îlmê zahirî yê ku wî pêşî jiber kiribû be, wisan bi hêsanî vê bersivê dide:

“- Peyva Bayezîd; «şanê min çi bilind e; ez xwe pak didêrim! Ez siltanê siltana me!.» îfadeya rewşa têrbûna manewî ye. Yanî ew bûbû ku tîbûna manewî ya wî bi tecellîyeke biçûk çû. Hecma okyanûsê bêdawî bû, lêbelê îstîaba qelbî ya wî ev qeder bû. Ji ber vê, rûhê wî êdî bi tecellîyeke biçûk kete halê teleb-nekirinê, ber bi sekrê (ji hişê xwe çûnê) ve hate kişkişandin; ew derkete derveyî alema aqil.

Hezretê Pêğember jî ji bo sirra «أَلَمْ نَشْرَحْ لَكَ صَدْرَكَ» bûbû mezher. Tecellîyên îlahî digel ku ji her alî ve ew pêça bûn jî alema dilî ya wî ya bi qasî kaînatê fereh, bi ti cureyekê bawer nebû, nexapîya. Mesafa di navbera bende û Rebbê wî de bi carên bêdawî wekî ku bêdawî ye, îstîaba qelbî ya wî jî bêdawî bû. Ji ber vê, tecellîyên namûtenahî yên ku ew ji bo wan bûbû mezher jî ji bo teskînkirina eşqa îlahî ya wî kafî nedihat, tam berevajî vê heta tu bibêjî bes, ew bi eşq û îştiyaq tî dibû û wî çi qeder ew vedixwar jî tîbûna wî bêhtir zêde dibû. Wî her an û wextê arzû dikir ku hê bêhtir ji Mewla’yê bilind ê xwe nêzîk bibe. Ew ji halekî ber bi halekî din ve bilind dibû, çi qeder ew bilind dibû jî wî ji bo halê xwe yê berê tobe dikir;

"*Ya Rebbî, min wekî pêwîst û bi awayê layiqê te, tu nas nekirî. Min bi awayekî temam ji te re evdînî nekir.*." [6] got, bi vî awayî wî îstiğfar û zarzar dikir.

Ha Hezretê Mewlana, bi van cure tecellîyên sirr û hikmetê kamil bû, ji sînorên îlmê zahirî bûrî, di keş û hewaya dilî de bi eşqa

6. Mûnawî, Feyzû’l-Qedîr, II, 520.

pêğemberî bû yek ji welîyên mezin ku xuşexuş û şireşir ji kehnîyên cip-cudayên maneyî yên dihat û ji zimanê wî hikmetan vedirêht.

## HEKE WELÎYÊ WÎ WIHA BE

Keça Siltanê Selçûqî û mirîda **Hezretê Mewlana Gurcu Xatûn** ressam û xettatê meşhûrê Seraya Selçûqîyan "**Eynûd-dewle**" şandibû cem Hezretê Mewlana ji bo bi awayekî xefî resimê wî çêke û jê re bîne. Ressam ğafilane derket, çû hizûra **Hezretê Mewlana** û rewş jê re vegot. Wî jî bi çehreyeke mutebessimane jê re got:

"-Kerem bike, tu bi çi awayî arzû dikî wê fermana ku li te hatiye kirin, wisan bîne cih!"

Ressam jî destpê dike, resmê wî xîjk dike. Lêbelê di encamê de pê hesîya ku resmê wî xîjk-kirî ti elaqeya wî bi sîmayê li hemberî wî re nîn e, mûhtewayeke din li wî hatiye kirin, ji nû ve ew destpê dike, wî xîjk dike. Bi vî awayî, dema wî hewl dida resmê Hezretê Mewlana xîjk bike, dibe şahid ku bîst caran şeklê wî hat guhertin û wî tam bîst rûpel kevin kirin. Di dawîyê de ew nekarîna xwe fehm dike û mecbûr dibe ku dest ji vî karî berde. Ew xwe ditewîne ji bo destê Hezretê Mewlana maç bike. Lewra hunera wî nîgarkêşê meşhûr, di nav xetên ku wî xîjk kirin de winda bûbû.[7]

Ev hadîse û rûdan dilê resmkêşî şîyar dike; ew di nav heyret, dehşet û lerzê de di mitala û hizrên kûr de noq dibe û ev rewş wî dike seyyahekî alema enfûsî. Di dawîyê de ressam ji wê pencera ku di dilê wî de hatibû vekirin di texeyyula Mezinê me Resûlê Xuda de noq dibe û ev peyv ji ser zimanê wî dirijin û tên:

7. Ev xîjkên ku hatibûne çêkirin heta vêga jî li mûzexaneya Mewlana dimînin.

“**Heke welîyê vî dînî wiha be, kî dizane ka nebîyê wî çawa dibe?**”

## QASID BI QASÎ YÊ KU EW ŞANDIBE DIBE!.

**Xalid bin Welîd** di esnaya seriyyekekê de koça xwe li cem hozeke/eşîreteke misliman datîne û li dev wan dibe mêhvan. Serokêlê wê şerîetê jê re dibêje:

“-Ji kerema xwe Mezinê me Resûlûllah ji me re vebêje?”

Xalid bin Welîd jê re dibêje:

“-Hêz û taqeta min têrê nake, ez nikarim sipehîtahîyên ebedî yên Mezinê me Resûlûllah ji we re vebêjim. Ji xwe heke tu dixwazî, ez bi tefsîlatî wan vebêjim, ev qet ne mûmkin e!”

Çi dema serokêl jê re got:

“-Naxwe bi qasî zanîna xwe wî ji me re vebêje! Wî bi awayekî kurt û tam rast ji me re tarîf bike!” Xalid vê bersivê dide:

“**Qasid bi qasî yê ku ew şandibe, dibe!**..”[8] Yanî: Li gorî ku yê ew şandiye Rebbê alemê ye, vêca tu şanê qasidê ku hatiye şandin hesab bike!

**Welhasil,** hîç hêz û taqeta ti beşerekî nikare bi maneyeke tam mezinbûn û bilindbûna Mezinê me Fexrê Kaînatê fehm bike. Em nikarin wî bi îdraka tixûbdara xwe bipîvin. Çawa ji ber nekarîna îdraka beşerî ya di vê qadê de ye ku Cenabê Heq bi xwe wî tekrîm û teqdîm dike. Ew bi xwe di bara eşkere-kirina şanê wî de wiha dibêje:

8. Mûnawî, V, 92/6478; Qestelanî, Wergera Mewahîba Ledunnîyye, Îstanbûl, 1984, rûp. 417.

“**Xuda û melaîketên xwe selewatan li ser Pêğember didin. Gelî mûmînan! Hûn jî selewatan li ser wî bidin û bi selamdaneke temam selamê li wî bikin**.” [9] Cenabê Heq bi xwe ji îdraka me re îlan dike ku Mezinê me Resûlê Ekrem bedîayeke xilqetê ye, wate ew xarîqeyeke bêhemta ya hunerê û şahesereke aferandinê ye.

Li ser vî esasî fehmkirina wî, di evdînîya ji bo Heq de mûhîmtirîn hoq û pêpeling e. Naxwe heta em wî fehm nekin, heta em wî nas nekin, heta em li pey rêç û şopa wî neçin, heta em para xwe ji hessasîyetên dilî yên wî wernegirin, ne îmana me dibe îmaneke tam, ne em karin Qur’anê bi awayekî tam îdrak bikin, ne jî evdînîya me dibe evdînîyeke temam..

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“(Resûlê min!) **Rûhû’l- Emîn** (Cebraîl) **ew bi zimanekî Erebîya tam eşkere ji dilê te re anîye xwarê ji bo tu bibî ji** (îrşad û) **îqazkeran**.”[10]

Heyata nebewî ya wî ya 23 salan ji bo Qur’anê wekî tefsîrekê ye. Sirr û hikmetên Qur’anê bes bi para xwe wergirtina ji tevna qelbî ya Mezinê me Resûlûllah, tên fehmkirin.

## BI FEYZTIRÎN RÊYA NASKIRINA WÎ

Naskirina Mezinê me Resûlê Ekrem, ji xwendina wî ya ji setran (nivîsan) zêdetir, bi xwendina wî ya ji sedran (sing û dilan) mûmkin e.

Yanî, divê mirov feyz û rûhanîyetê ji alema dilî ya alim û arifên ehlê teqwayê wergire ku wan bi xwe exlaqê nebewî ji xwe re kirine exlaq û mirov wî wilo bixwîne. Bes mirov dikare wî, bi maneya

9. Ehzab, 33/56.
10. Şûera, 26/193-195.

kamil bi hestên qelbî yê mûmînên ehlê teqwayê bixwîne. Naxwe em çi qeder karibin bi teqwayê ji wî nêzîk bibin, em bes ew qeder dikarin wî nas bikin.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“... **Hûm bibin ehlê teqwayê, Xuda dê** (tiştên ku hûn nizanin jî) **li we bide hînkirin**..” [11]

Ji lewma hînbûna Sîyera Nebî sirf bi failîyeta xwendineke kronolojîk nabe. Ewên ku heyata wan dişibihe heyata Mezinê me Resûlûllah, ew ji her kesî bêhtir Sîyera Nebî dizanin. Ewên ku wî baştir nas dikin, ew dostên Heq in ku di nav heyata teqwadarîyê de ne, bi titîzî sunneta wî di heyata xwe de dijîn û bi hesret û mehebbet ji bo Wî taverojê rehmê bûne hîlal. Lewra çawa sihek bi sedaqet û peywendîyeke mûtleq ji bo xwediyê xwe pêbend be, ew jî wilo li pey rêç û şopa nûrdara Resûlê Xuda diçin.

Çawa ku bi ayeta pîroz jî hatiye te’yîdkirin Mezinê me Pêğember hîç ji hewa û hewesa nefsa xwe nedipeyvî. Ew ji bo wehya ku jê re dihat şandin bes tercuman, tetbîqatkar, îzahkar, teblîğkar û temsîlkar bû.

Ew dostên Heq ku di Fena fir-Resûl de, yanî di mehebbeta Resûlûllah de fanî û tine bûne, ji nefsa xwe, ji hewa û hewesên xwe napeyivin. Ew her wekî ney’ekê ne, ji ber ku wan alema navxweyî ya xwe ji masîwa vala kiriye, naxwe hemû deng û sedayên îrşadê ku ji wan werin bihîstin, parek ji nefesa enbîya ye ku wan bi xwe exlaqê enbîya ji xwe kiriye exlaq. Qelbên wan ayneyeke mûcella ye ku nûrên Heq û heqîqetê xwe têde didin xuyakirin. Bi îfadeya nebewî; “*Cenabê Heq ji bo wan bûye ew guhê wan ê ku pê dibihîzin, ew çavê wan ê ku pê dibînin, ew destê wan ê ku pê werdigrin,*

11. Beqere, 2/282.

*ew lingê wan ê ku pê birêve diçin, ew qelbê wan ê ku pê aqil dikin û ew zimanê wan ê ku pê diaxivin..*"[12]

Mezinê me Nûrê hebûnê taverojeke ku heyecana seadeta ebedî dide her tiştî û ronahîyê dide hemû aleman. Welî jî ku warisên enbîya ne, bi heyata teqwadarîya ku jîyane wekî mehtavan e ku ew jî ayneya Wî taverojî ne. Hebûna mehtavê bi hebûna taverojê ve bend e. Lewra hemû nûr, sipehîtahî û îhtîşama mehtavê eks û perteweke biçûk e ku ji taverojê tê..

**Şêx Sadî**, dide zanîn ku welî, ji bo hemû sipehîtahîyên xwe ji Resûlê Xuda re deyndar in, wan hemû sermayê dilê xwe ji rûhanîyeta Resûlûllah tefeyyuz kiriye. Ew di berhema xwe ya bi navê **Gulistan**ê de vê rastîyê bi uslûbeke temsîlî wiha hîkaye dike, dibêje:

"Zilamek diçe hemamê. Li hemamê, dostekî wî kîleke (axeke paqijker) bêhnxweş dide wî ji bo ew pê were temîzkirin. Ji wê kîlê bêhneke zehf xweş difûre û ew rûhê wî difirkîne, miz dide. Ew zilam ji kîlê dipirse:

"-Mûbarekê! Tu misk î, yan amber î? Ez bi bêhna sipehî ya te ya dil-kêş, mest bûm..."

Kîl jî wiha bersiva wî dide:

"- Ez ne misk im, ne jî amber im. Wekî hûn dizanin, ez elelade axek im. Lêbelê ez di binê şitla gulekê de bûm û ez her seherê bi şevnemên ku ji ğunçeyên gulan dizenzilîn dihatim stran. Ha ev rayîha'ya ku hûn hestpê dikin û dilan keyfxweş dike, ya wan gula ye.."

Gul, sembola Mezinê me Hezretê Pêğember e. Mûhîmtirîn tehsîl di vê dersxaneya heyatê de ev e;

12. Li Buxarî, Rîqaq, 38'an binêrin.

Mirov karibe Wî Şahê Gulan nas bike,

Mirov karibe ji bêhna mûbareka wî gulî û ji tevna rûhanî ya wî nesîbê xwe wergire,

Mirov karibe bibe daneyeke şevnemê ji pelên wî gulî...

Di vê rê de melzema bingehîna pêwîst, hezkirina ji wî ye.

## MEHEBBETA MÛHEMMEDÎ

Di qelbê me de çi qeder hezkirina me ji Mezinê me Resûlûllah hebe, naxwe em ew qeder wî nas dikin. Hebîbê Xuda gotiye:

"*Şexs bi hezkirîyê xwe re ye*." [13]

Yanî tekane kartêkerê ku pevrebûna qelbî temîn dike mehebbet e. Mehebbet, her wekî xeteke cereyanê ye, ew dilan bi hev û din ve girêdide. Dîsa ev rewş, di fîzîkê de ji bo firağên hevgirtî mîsal e; heta îrtîbata mehebbeta wan pev re dewam bike, keyfîyet jî destpê dikin dişibihin hev û din. Zewq, nefret, hest û dîtin-nêrîn ji bo aynîbûnê meyl didin.

Du kesên ku bera ji hev hez bikin, tiştekên ku ew herdu bi awayekî hevpişk jê hez dikin ji hev re îkram dikin û ji hev re hedîye dikin. Hezkirîyê wî ji kîjan çîçekê hez dike ew wê dibe. Çi tişt li xweşîya hezkirîyê wî diçe, ew wê dike. Lewra hezker, hezkirîyê wî ji çi hez bike, ew jî ji wî hez dike, ew ji çi hez neke, ew jî jê hez nake, wî ji bîra xwe nabe û ji ser zimanê xwe jî naxe.

13. Buxarî, Edeb, 96.

## DIBÊJE WÎ WIHA DIKIR..

**Ebdûllahê kurê Hezretê Ûmer** hê ji zarokatîya xwe ve hemû heyata xwe kiribû nezr ji bo gav bi gav Mezinê me Resûlûllah taqîb bike, wî -çi hikmeta wê zanîbe, çi jî nizanîbe- her tişta ku Mezinê me kiribe hewl dida ew jî wê bike.

Mesela; wî dîtibû ku Mezinê me ji çeşmekekê av vexwariye, ew jî dem bi dem diçû ber wê çeşmê û av jê vedixwar. Wî dîtibû ku Mezinê me xwe li binê darekê dabû ber sihê, ew jî car caran çûye ber wê darê û xwe daye ber siha wê. Dîsa wî dîtibû ku Mezinê me pala xwe daye zinarekî û li berê rûniştiye, ew jî carina diçû cem wî zinarî, pala xwe didayê û bêhnekê li wir rûdiniştiye.

Dîsa Ebdûllah bin Ûmer di esnaya heceke xwe de midetekî li ser zinarekî yê li kenarê Cebelê Rehmê rûniştibû. Dema sebebê vê jê hatibû pirsîn; tu çima li wir rûniştî?

Wî ev bersiv dabû:

“Mezinê me Pêğember piştî Heca Wedaê mitetekî li ser vî zinarî rûniştibû.”

Dîsa dema ew bi karwanekî re li rêwengîyê bû, wî karwan li deverekî dabû rawestandin û çûbû cem dareke li ser girekî ku piçekî ji wir biwêdetir bû û hatibû. Dema hevalên wî sebebê vê hereketa wî jê pirsîn; tu çima çûyî cem wê darê û tu hatî?

Wî ji wan re got:

“Dema rojekê Resûlûllah di vir re derbas bû, çûbû binê wê darê û careke din hatibû.”

Ev sehabîyê evîndar hewl dida wek sihekê Mezinê me Resûlê Ekrem taqîb bike, rewşa wî di wexta wefatê de jî pirr îbretdar e.

**Îbnû Ûmer** li Mekkê ji nişka ve narehet dibe. Li gorî rîwayetan Heccac jehr dabûye wî. Ew bi êşeke mezin ketibû. Ew vî halê wî yê yextiyarîyê ve birin bin çadirekê. Wî di wê esnayê de ne dikarîbû biaxive, ne jî dikarîbû dest û milên xwe bilebitîne. Wî dixwest tiştekî ji mirovên li cem xwe re bibêje. Lêbelê ewên li cemê jê fehm nakin ka ew çi ji wan dixwaze. Dema wî bi awayekî bêçaretî di çadirê de çavnêrî dikir, mirovekî ku ji nêz ve Ebdûllah bin Ûmer nas dikir hate binê çadirê. Ew jî derhal ji wî kesî re vedibêjin Ebdûllah bin Ûmer her wekî ku dixwaze tiştekî ji me re bibêje, lêbelê em jê fehm nakin ka ew dixwaze çi ji me re bibêje. Ew kes ji wan dipirse, ji wan re dibêje:

"-We berî bîstikekê çi ji wî kir?"

Ew jî jê re dibêjin:

"-Me desmêja wî da girtin."

Ew kes dîsa ji wan dipirse, ji wan re dibêje:

"-Baş e, dema we desmêja wî da girtin, we guhê wî jî mesh kirin?"

Ew jê re dibêjin:

"-Na, me ew ji bîr kir!.."

Ew zat ji wan re dibêje:

"-Ma hûn wî nas nakin? Wî di dirêjahîya heyata xwe de hewl daye ku Mezinê me Resûlûllah çi kiribe ew jî wê bike, wî xwe ji çi vedabe ew jî xwe ji wê vede."

Vêca ew jî derhal pişta guhê wî mesh dikin. Piştî meshkirina pişta guhê wî Hezretê Ebdûllah bin Ûmer diltengîya wî belav dibe diçe, bêhna wî fereh dibe, ew tebessum dike û piştre di nav hizûrê de rûhê mûbarekê xwe teslîm dike.

Ha ew sehabîyên evîndar ên ku dilê wan ji mehebbeta Mûhemmedî tije bû, bi qasî wan dêhnê xwe dida ser wan fermanên ku Mezinê me Resûlûllah anîbûne zimanê, wan eynî wisan bi hessasîyeteke mezin bala xwe dida ser îma û îşaretê wî jî. Wan ew wisan taqîb dikir ku hema wan carekê ew li ser kirina amelekî salih dîtibûye, ew ji wan re kafî bû ku ew jî wî amelî bikin. Ji bilî vê jî gerek nedikir ku Ew ferman li wan bike, ji wan re bibêje hûn vî amelî bikin. Wan ji ber xwe ve hewl dida ku di dirêjahîya emrê xwe de vê sunneta sipehî her tetbîq bikin.

Çawa **Enes** dibêje:

“Min rojekê Mezinê me Resûlûllah dît ku wî nimêja Dûha şeş rekat kirin. Min piştî wê rojê êdî ev nimêj hîç terk nekir.”

**Hezretê Hesenê Besrî** jî ku ev rîwayet veguhastiye, wî bi heman hessasîyetê wiha digot:

“Min jî di piştî van îfadeyên Hezretê Enes de ew nimêj hîç terk nekirine.” [14]

**Cabir** diguhêze:

“Rojekê Mezinê Me Pêğember bi destê min girt û ez bi xwe re birim mala xwe. Wî qetek nan derxist û ji malbata xwe pirs kir, got:

"Ma ti pêxwarinek heye?"

Wan got:

“-Li malê ji sirkê pê ve tiştekî din nîn e.”

Resûlûllah got:

"-Sirke çi xweş pêxwarin e."

14. Teberanî, Ewset, II, 68/1276.

Piştî min ev peyv ji Mezinê me Resûlûllah bihîst êdî ez jî pirr ji sirkê hez dikim." [15]

Ha di wan dilên ji mehebbeta Mûhemmedî tije de zewq û lezzet jî wiha diguherîn. Mîsaleke din ji bo vî halî jî alimê mezin ê hedîsê û mûctehid **Hezretê Îmam Newewî** ye. Wî jî hewl dida ku bi hessasîyete wisan ji bo Mezinê me Resûlê Ekrem bibe tabî û peywend ku ji bo wî nizanîbû ka Resûlê Xuda şebeş çawa xwariye, ji tirsa ku dibe ew li derveyî terzê wî hereket bike, ji lewma wî di dirêjahîya emrê xwe de şebeş hîç nexwariye..

Dîsa dostê Heq **Hezretê Xoce Ehmedê Yesevî** jî ku ji bo wî Taverojê Hîdayetê evîndar bû û hîlaleke nûrdar bû, ji ber ku Mezinê me Fexrê Kaînatê de di 63 salîya xwe de îrtîhal kiribû, çû ebedîyetê, wî di piştî vî emrê xwe de ji gera li ser dinyayê xatir xwestibû û heta bi wefata xwe jî deh salan di cihekî wekî mezar de heyata xwe ya îrşadê berdewam kiribû..

Mûezzinê Resûlê Xuda û bilbilê şewitîyê bexçê cennetê **Hezretê Bîlal** jî di piştî îrtîhala Mezinê me ya ji bo Uqbayê de li Medînê nesekinîbû. Ev evîndarê Resûlûllah di dirêjahîya emrê xwe de bi hesreta wê roja ku ewê têde bigihîje Mezinê me dijiya, wî di şêst û çend salîya emrê xwe de li Dîmeşqê wefat kir. Wî li ber wefata xwe jî wiha digot:

"Sibê înşaellah ezê bigihîjim dostên hezkirî yên xwe; Hezretê Mûhemmed û hevalên wî."

Hevjîna wî jî digot:

"Wey li minê, wey li minê!" û wilo digrî û ji xwe re derd çêdikirin, dilê Hezretê Bîlal jî ji evîna Pêğember tije bû, wî jî bi keyf digot:

15. Mûslim, Eşrîbe, 167-169.

"-Ox çi xweş e, ox çi xweş e!" [16]

Tabîî ye ku mirov emrê xwe, bi bendbûna mehebbeta Wî wek bilbilekî evîndar bijî, hingê mirin jî dibe cejn û dîlana wusletê û mirov têde jî keyfxweşîyê dijî.

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

"*Were hey dilo! Cejna heqîqî, wusleta Cenabê Mûhemmed e. Lewra ronahîya cîhanê, ji nûra cemala Wî heyberê mûbarek e.*"

Ha mirin ji bo wan dilên evîndar ên ku ji bo vî nûrî bûne perwane, şeva dawetê û dema wusleteke mesûd e. Çawa ev halê hevjîna Mezinê me Resûlê Ekrem û dêya mûmînan **Hezreta Aîşe** çi qeder îbretdar e.

Mezinê me Pêğember li oda dêya me Aîşe gihabû Refîqê 'Ela û li wir hatibû definkirin jî. Dêya me Aîşe ya ku di heyata xwe de gihabû bextewarîya jinbûna ji bo Resûlê Xuda, wê di piştî wefata wî de jî ew oda ku qebra Mezinê me lê bû, terk nekir. Her wekî turbedareke sadiq li ber serê qebra seadeta wî jîyana xwe berdewam kir. Piştî du sal û sê mehan, bavê wê Ebûbekr jî wefat kir. Ew jî li ber lingê Mezinê me defin kirin. Li pey wan bi qasî miqdarê mezarekî tenê cih ma. Hezreta Aîşe ev der ji bo xwe hiştibû. Lêbelê çi dema Hezretê Ûmer di nefesa dawî ya xwe de destûr jê xwest ku di wir de were definkirin, wê fezîleta îsareke mezin şanî da û ev heqê xwe ji bo wî dewr kir.

Li gorî rîwayetê dêya me Aîşe di hucra seadeta xwe de dema qebrên Mezinê me Pêğember û Hezretê Ebûbekr tenê hebûn, wê dikarîbû li cem wan bi awayekî rehet hereket bikira. Lêbelê di piştî definkirina Hezretê Ûmer de bi sebeb hesta bilinda wê ya heyayê, wê di navberê de perdekek kişand û oda xwe kir du beş.

16. Zehebî, Sîyer, I, 359.

Ha vê dêya mûbareka me ku di dirêjahîya emrê xwe de nêzîkbûna ji Resûlê Xuda mezintirîn seadet dizanîbû, wê di dema nêzîka wefata xwe de jî ev wesîyeta du maddeyî kiriye. Ew jî ji bo heyecana gihiştina cem Mezinê me Resûlê Ekrem tezahureke mûstesna ye:

"1. Dema ez wefat bikim, karên pêwîst bikin, cenazê min nedin rawestandin û ku wextê şevê be jî min defin bikin.

2. Dema hûn cenazê min bibin qebrê jî li kenarê tebûta min çiqilên hişk ên xurma bişewitînin û wilo min bibin."

Li gorî adetên berê li Erebistanê, dema şeva dawetê bûk dibirin mala zavê, li kenarê civata dawetê çiqilên hişk ên xurma dişewitandin. Ha divê ev wesîyeta dêya me Hezreta Aîşe be, ya ku ji bo "Şeva Dawetê" îlham daye Hezretê Mewlana..

## HESSASÎYETA SUNNETA SENÎYYE

Mezintirîn delîla naskirina Mezinê me Resûlê Xuda û hezkirina ji wî, bi awayekî sipehî tetbîqkirina sunneta wî ye. Heta mehebbeta Mûhemmedî di qelban de çênebe, îttîba sunnetê, wê îttîba sûretî û bi gavî be ku wê dil ji feyzê, rûhanîyet û bereketa manewî mehrûm be.

**Ebdûllah bin Deylemî** ehemmîyeta bi evînî peywendbûna bi sunnetê wiha îfade dike:

"*Li gorî (rîwayet) gihaye min, wê destpêka (tinebûn û ji nav) çûna dîn, bi terk-kirina sunnetê çêbibe. Wekî ku ta bi ta yên ben vedibe û di dawîyê de ew diqete, dîn jî yek bi yek bi terk-kirina sunnetê wê di dawîyê de ji dest beçe, here.*" [17]

17. Darimî, Mûqeddîme, 16.

Yanî yek bi yek derketina sunnetan ji heyata me, -Xuda nekewê me bixe rewşeke wisan ku felaha ebedî ya me bi rîsê ta ve girêdayî be.

Ji ber vê mezintirîn kerametê alim û arifên dostên Heq ku wan ji her kesî bêhtir Mezinê me Hezretê Pêğember nas dikir jî ev e; wan di heyata xwe de bi hessasîyeteke mezina dilî sunneta senîyye jîyaye.

Bêşiwar di nav beşerîyetê de mirovê ku ji her kesî bêhtir layiq e însan jê hez bike Mezinê me Resûlûllah e ku Rebbê me lutfa xwe lê kiriye, ew şexsîyeta sipehîtirîn e û ew mezintirîn mûcîze ye ku di însanîyetê de tecellî kiriye. Alema dilî ya wî ji bûna wekî bexçekekî cennetê ku ji çîçekên nadîde û zarîf û gulên bêhnmisk hatiye pêkanîn hê biwêdetir meşhera/teşhîrgeha sipehîtahîya ye.

Ha di vê nuqtê de em mecbûr in hinek sûalan ji xwe bipirsin:

Gelo em çi qeder ji wê bahora rûhanîyeta ku ji wî bexçê cennetê tê îstîfade dikin?

Gelo heyata malbatî ya me çi qeder dişibihe ya wî?

Gelo heyata bazirganî ya me çi qeder di minwala wî teswîb kirî de ye?

Gelo heyata îctîmaî ya me çi qeder di endazên ku wî danîn de ye?

Qelbê wî ji bo ummeta wî bi riqqet lêdida, gelo em li hemberî feqîr, bêçare, bêkes, mezlûm, sêwî û yên ku çavên wan li hîdayetê ye çi qeder hestgerm in?

Di mûqabilî exlaqê wî yê xweş de, em wek ummeta wî gelo çi qeder rûkenîya Îslamê, tevna dilî ya wê, pêkhatina rûhî ya wê, zarafet, nezaket û estetîka wê temsîl dikin?

**Cenabê Heq, me ji bo Zatê Bilindê xwe bike bendeyekî semîmî û me ji bo Nebîyê mûhterem jî bike ummeteke layiq! Wî Mezinê me Resûlûllah heta qiyametê ji bo beşerîyetê wek sipehîtirîn şexsîyeta nimûneyî kiriye dîyarî, vêca ew ji bo me jî bike nesîb ku em karibin bi nêrîna dilî ya wî bixwînin, em para xwe ji tevna qelbî ya wî wergirin û em karibin li ser sunneta wî bijîn, di qiyametê de jî em di bin alaya Hemdê de bigihîjin wî, ji Hewzê Kewserê têr têr vexwin û bigihîjin Şefaeta Uzma'ya wî!.**

**Amîn!..**



# *Tewazû*

*Evdînî bi zanîna heddê xwe destpê dike. Însanê ku bi awayê layiq vê zanibe, têde ji bo xwe mezin-kirin, hebûn û îddîaya ezper-estîyê mecal namîne.*

*Çawa ew darên ku fêkîyên wan gihabin; çiqilên wan bi erdê ve ditewin û ew fêkîyên xwe ji însanan re îkram dikin; eynî wisan însanên bijarde yên xwedî îlm û îrfan jî mûtewazî û xwedî îkram dibin. Bi vî awayî, ew alema dilî ya xwe dikin xezîneyeke wisan ku hemû heyber karibin jê îstîfade bikin.*

# TEWAZÛ/NEFSBIÇÛKÎ

Ew sirra ku însanî dike însan, wî bi cewhera eslî ya wî dide naskirin, wî digihîne ğaya esasî ya hebûnê û di encamê de wî di însanîyetê de digihîne kemalê, **exlaqê xweş** e ku ew jî di zemîna îmanê de neşw û nema dibîne.

Esil bilindahîya însanî, kemala wî, fezîleta wî û qîmetê wî bi qasî sewîya exlaqê wî ye. Li vê cîhanê ji bo mirov karibe bibe evdekî ku Heq Teala ji mirov razî be, divê mirov manen (bi maneyî) kamil bibe. Rêya vê gihan û kemalê jî di "**terbîya manewî**" re derbas dibe.

## DOSTÊN HEQ

Çawa qezencbûna her huner û marîfetê, îhtiyaca wê bi rêberîya rêzanekî heye, seydayên terbîya manewî "**dostên Heq**" jî her ew in yê ku ji bo şexsîyet û karaktêra însanî bi awayê sipehîtirîn û rasttirîn îstîqametê şanî bidin. Lewra wan;

- Bi awayekî layiq zahir û batinê dîn mezc kiriye û li ser şexsîyeta xwe nexş kiriye,

- Di rêya zuhd û teqwayê de qelben (bi qelbê xwe) merhele qut kirine û bi mûkemmelîyeta bizavan gihane,

- Îdrak û îhateya xwe ji bo ufûqa herdu cîhanan fereh kirine, bi lezzeta îmanê û kûrahîya hestan gihane,

- Ew bendeyên arif, salih û mûmîn in ku hemû ğeyretên wan ji bo tehqîqkirina vê hedefê bûye; ew karibin însanîyetê ji xuyên xirab û ğeyya tarî ya nefsê xilas bikin û karibin wê ber bi exlaqê xweş ve, yanî ber bi kemala manewî û asîmanê rûhanîyetê ve bilind bikin.

Ji ber ku alema dilî ya wan di her an û wextê de bi Heq Teala re ye, ew tim û daîm Heq di bîra xwe tînin. Naxwe ewên ku li ser rêç û şopa wan diçin jî digihîjin wê hikmet û marîfetê ku heyat û hadîseyan ji pencera axretê ve seyr bikin.

Hal û hereketên dostên Heq, bi umûmîyet bi mûrada Heq re miwafiq tên. Lewra Mezinê me Pêğember dide zanîn ku Ellah Teala di hedîse qusî de wiha gotiye:

*“..Dema ez ji evdê xwe hez bikim (her wekî ku) ez dibim ew zimanê wî yê ku pê diaxive, ez dibim ew qelbê wî yê ku pê aqil dike, ez dibim ew guhê wî yê ku pê dibihîze, ez dibim ew çavê wî yê ku pê dibîne, ez dibim ew destê wî yê ku pê werdigre û ez dibim ew lingê wî yê ku pê birêve diçe..”* [18]

Exlaqê dostên Heq, eks û xuyahîyan ji feyza dinyaya dilî ya Mezinê me Resûlûllah diguhêze ku ew bi xwe jî ji bo Qur’anê tefsîreke fiêlî bûye. Dostên Heq hewl û cehd kirine ji bo bi titîzî sunneta senîyye ya Mezinê me Taverojê Rîsaletê di heyata xwe de tetbîq bikin, aynî wekî wê mehtava ku nûra xwe ji taverojê werdigre, ew di cihê ayneyeke berraq de ne ku sipehîtahîyên wî exlaqê nebewî didin xuyakirin. Ji bo vê ye ku ewên, hemû hal û hereketên wan bi riqqeta qelbî seyr dikin û bi mehebbet bi wan mirovên dilî re bend dibin, di alema wan de tecellî yên zarîf ên exlaqê nebewî mûşahede dikin.

Rebbê me ji bo evdên xwe yên welî, di hemberî îxlas û semîmîyeta wan de di dilên wan de selahîyeta teserrufatîyê îhsan

18. Buxarî, Rîqaq, 38; Mecmûetû’z-Zewaid, II, 248.

kiriye. Lewra ew, pêşî di heyata xwe de li ser îstîqametê dijîn, bizzat bi hal û hereketên xwe ji derdorên xwe re feyzê dipijikînin û zarafet û nezaketa Îslamê temsîl û telqîn dikin. Ew di nav vê de ji bo bereketa tesîreke mûstesna bûne mezher.

Ew peyvên ku mirov di heyata xwe de najî û ew hereketên rîyakarane yên ku ji semîmîyetê dûr in jî, wekî îkramên nav pûç û vala ne. Ev cure peyv û hereket, li hemberî bayên dijwarê heyatê hîn demeke zehf derbas nebûyî winda dibin û diçin, li pey xwe jî şopeke biçûktirîn jî nahêlin. Di mûqabilê van de jî dostên Heq jî nexşên wisan sağlem li pey xwe dihêlin ku ew ji qelban hîç xîç nabin û sirrê dewamkirina wan jî exlaqê bilind, semîmîyet û mehebbeta wan e.

Tesewwuf ji vî cîhetî ve jî, sirf ne ev e; mirov dest û zendên xwe ji dinyayê bikişîne, wekî ku Yûnus jî gotiye ew sade ne ev e; mirov bes tac û xirqayê li xwe bike û bi hinek ewrad û ezkarê dîyarkirî îktîfa bike. Tam berevajî vê tesewwuf bi heqîqeta xwe ev e; mirov karibe bi tecellî yên bêjimar ên hikmetê ku di heyat û kaînatê de hatine raxistin rûhen (bi rûhê xwe) kûr bibe û di rêya wusleta îlahî de mesafê bistîne. Ev jî bes bi vê çêdibe ku mirov hîçbûna xwe li hemberî herkên ezamet û qudreta îlahî îdrak bike û di her nefesê de bi nîyaza “**Eman ya Rebbî!**” ve bend be, û bi wê bijî.

Dostên Heq, ji bo her mûhîtê ku lê bin wesîla rehm û bereketê ne. Ew serkehnîya şefqet û mehebbetê ne, ku ji bo hemû beş û qismên civakê rehmê dibarînin. Dilên wan dergehek e ku hemû mexlûqatan hemêz dike. Ew ji bo civakê her wekî meğnetîsekê merkeza cazîbê ne. Lewra Cenabê Heq, ji van evdên salih ên xwe ku exlaqê wî ji xwe re kirine exlaq, hez kiriye û ew bi xelkê jî dane hezkirin.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Herçî ewên ku îman anîne û amelên salih kirine, Ew Ellahê ku ji bo wan pirr bi merhemet e, wê** (di dilan de) **ji wan re hezkirinekê biaferîne**.” [19]

Ji bo vê ye ku dostên Heq di piştî wicûda (bedena) fanî ya xwe de jî nabin mazî (kevin û dembûrî), nayên jibîrkirin, di dilên hezkirîyê xwe de her dijîn û ew li ser (kirina) îrşadên xwe jî berdewam dibin. Ev hezkirina ku Cenabê Heq li hemberî evdên xwe yên welî ji bo dilên nesîbdar lutf kiriye, di eslê xwe de ew nîmeteke zehf mezin e ku ji bo seadeta ebedî jî wesîle ye. Lewra wadeya nebewî heye ku mirov li dinyayê ji kê hez bike, li axretê jî bi wî re dibe. Naxwe hezkirina ji van evdên mûstesna yên Cenabê Heq û hewldan ji bo nêzîkbûna ji wan, evdî ji Rebbê wî nêzîk dike.

Heke em jî ji welîyan ku ew evdê hezkirî yên Cenabê Heq in, hez bikin, heke em arzû bikin ku li axretê bi wan re werin heşrkirin, divê em hewl bidin para xwe ji exlaqê xweş ê wan wergirin. Lewra elametê hezkirinê, hevhalbûna bi wan halan e ku hezkirîyê mirovî ji wan hez dike.

Li ser vî esasî, ji bo hewldana xwe xistina exlaqê dostên Heq jî îcab dike mirov tecellî yên mûhteşem ên exlaqê xweş ê di wan de baş îdrak bike. Ha yek ji wesfên fariq ên ku exlaqê ulwî yê dostên Heq dide şanîdan jî:

## EDEBEKE BILINDA EVDÎNÎYÊ; TEWAZÛ YE

Evdînîya ji bo Heq; berî her tiştî karê şiûreke bilind e. Divê hîçbûna xwe li hemberî qudret û ezameta îlahî îdrak bikin. Divê em têbigihin ku em bi vîyana Heq ji tinebûnê hatine hebûnê. Divê em bigihin vê şiûrê ku em bes dikarin hebûna xwe jî bi lutf û kerema

19. Meryem, 19/96.

wî berdewam bikin. Divê em pê zanibin ku di her an û her nefesa me de îhtiyaca me bi wî heye. Ev îdrak û têgihiştin rasteqîneya evdînîya me teşkîl dike. Yanî evdînî, di vê de dibûre ku mirov karibe li hemberî selteneta îlahî mewqîîyê bêçaretîya xwe bibîne û heddê xwe zanibe. Însanê ku bi awayê layiq vê zanibe, têde ji bo xwe mezin-kirin, hebûn û îddîaya ezperestîyê mecal namîne, ew di halê tazîmeke fereh û edebê de bêçaretîya xwe îtîraf dike. Çawa ku **Hezretê Hudayî** gotiye:

"*Tu yî yê ku distîne, Tu yî yê ku dide, Tu yî yê ku dikî! Te çi dabe me ew e, ma me çi yê din heye?!*" Wî bi vî awayî bi bal Heq ve îltîca kiriye. Bi hemd, şukr û rizayê evdînîya xwe îtîraf kiriye û bêçaretîya xwe şanî daye. Ji lewma ewên ku di tewazûyê de nesîbê wan nebe, wan bi awayekî layiq qudret û ezameta Rebbê xwe îdrak nekiriye.

Dîsa wekî vê nîyaza ku siltanê arifan **Hezretê Mewlana** kiriye, gotiye:

"*Ez bûme kole, ez bûme kole, ez bûme kole. Ez evdê bêkêr, ji ber min evdînîya xwe bicih neanîye min şerm kir û serê xwe di ber xwe de tewand. Her kole dema azad dibe keyfxweş dibe. Îlahî! Ez jî ji ber kole-evdê Te me, keyfxweş bûme.*" Wekî ku di vê nîyazê de wisa ye, tewazûya heqîqî dike ku ev stûyê xwe li hemberî ezameta îlahî xwehr dike û ew hîçbûn û tinebûna evdî pê dide îtîrafkirin.

Çawa ku nevîyê Mezinê me Pêğember **Hezretê Hesen** Kabe tewaf kiriye, di Meqamê Îbrahîm de piştî du rekat nimêj kirine, ev bergerîna xwe ya bi hestgermî û dilperîşanî dubare kiriye. Ev bergerîna wî di edeba evdînîyê de çi mîsaleke sipehî ye:

"*Ya Rebbî! Evdê Te, yê biçûk û zaîf hatiye ber derîyê Te. Xudayê min! Xizmetkarê Te, yê bêkêr hatiye ber derîyê Te. Ya Rebbî! Persekê Te, hatiye ber derîyê Te, feqîrê Te, hatiye ber derîyê Te!..*"

Hezretê Hesen di piştî vê îltîca'ya dilşewat de ji wir diçe, di rê de li hinek mirovên jar û belengaz rast hat, wan jî hewl dida zikê xwe bi qetek nan têr bikin. Ew silavê li wan dike. Ew jî Hezretê Hesen ji bo xwarinên mûtewazî yên xwe dawet dikin. Nevîyê Pêğember Hezretê Hesen jî bi wan feqîran re dirûne û dibêje:

"-Heke min zanîba ku ev nan ne sedeqe ye, minê bi we re xwariba." Piştre jî wî ji wan re got:

"-Heydê rabin, em herin mala me!" Piştî ew zikê wan belengazan rind têr dike, cilan jî li wan dike, hinek dirav û pere jî dixe berîka wan û oğira wan bi xêr dike." [20]

Ha ev rewşa tewazûyeke heqîqî ye, ew edebeke bilinda evdînîyê ye ku mûmînî li hemberî Rebbê wî û li hemberî mexlûqatên wî di nav kûrahîya hestan de dide jîyandin. Ewên ku karibin van edeban li ser şexsîyetên xwe nexş bikin, di hal û hereketên xwe de bi pîvan û bi diqqet dibin. Ew di rabûn û rûniştina xwe de, di cil û qîyafetên xwe de, di axaftin û huşbûnên xwe de, di rawestin û rêveçûnên xwe de welhasil di her halê xwe de di nav tezahura vê edebê de dibin.

Cenabê Heq dibêje:

**"Evdên xas ên Rehman** (ewên ku rehma Xuda di wan de tecellî dibe) **ew kes in ku li ser erdê bi weqûr û tewazû birêve diçin**..." [21]

"**Li ser erdê bi xwe mezinkirin birêve neçe. Lewra tu** (bi giranî û ezameta xwe) **ne dikarî erdê biqelêşî, ne jî dikarî di bilindahîyê de bi çîyan re pêşbirkê bikî**." [22]

20. Ebşîhî, el-Mûstetref, Beyrût 1986, I, 31.
21. Furqan, 25/63.
22. Îsra, 17/37.

“**Bi biçûk-xistin berê xwe ji însanan venegerîne û li ser erdê bi xwe mezinkirin birêve neçe. Lewra Xuda, bi ti awayan ji mirovê ku xwe diecibîne û pesnê xwe dide, hez nake**.” [23]

Di van ayetên pîroz de birêveçûna bi gavên meğrûrane û xwe şanîdan hatiye menkirin. Nimûneyek ji halê mûtewazî-bûna Mezinê me Resûlê Ekrem jî ev e; ew her wekî ku ji kaş ve xwe berde wisan bilez û gavên weqûrane li ber xwe dimeyzand û wilo birêve diçû. Çawa ev exlaqê hemîde, ji bo dostên Heq jî bûye şîar û ew di tesewwufê de jî bi vegotina “**nezar ber qedem**” bûye destûreke mûhîm.

Di dema rêveçûnê de di meyzandina li serê lingê xwe de; fezîletên her wekî tewazû, edeb, heddê xwe zanîn, çavê xwe ji heramîyê parastin û pêbendbûna bi fermanên Xuda û Resûlê wî hene.

Sade ne di dema rêveçûnê de lêbelê di her halûkarî de mûtewazîbûn ji bo mehebbeta Heq dibe wesîle. Çawa ev rastî di hedîsa şerîf de jî wiha hatiye eşkerekirin:

“*Kî, ji bo Xuda tewazûyê şanî bide, Xuda dê wî bilind bike. Kî jî xwe mezin bike, Xuda dê wî nizm bike*.” [24]

Dostê Heq **Hezretê Mewlana** jî, di xusûsa tewazûyê de wê hikmeta ku ax ji bo îdraka însanî pêşkêş dike, dixwîne û gazî li mirovan dike ji bo ew di tewazûyê de bibin wekî axê. Ew dibêje:

“*Ellah gotiye: «Ey însan, bi diqqet binêre û bibîne, min ji rûhê xwe tuxmek di wê bedena te ya ku ji axê hatiye aferandin de çand û min tu bilind kirî. Dema tu tozek ji vê axê bûyî, min tu kirî heyberekî qenc. Min aqil da te, min evîn da te. Tu, hemlekeke din jî bike, axê,*

23. Luqman, 31/18.
24. Heysemî, X, 325.

*yanî tewazûyê ji bo xwe bike sifet, bike xuy. Min jî tu li ser hemû aferîndeyên xwe kirî mîr.»*"

**Şêx Sadî Şîrazî** jî, balê dikişîne ser sirrê fezîleta bilindbûna maneyî ya tewazûyê, ew avê bi nezara hikmetê dixwîne û wiha dibêje:

"*Lehî, ji ber ku bi heybet dikişe bi sernişûfî di hev de totlanî dibe û diçe. Dilopa aşîtê jî ji ber ku biçûçik û bêçare ye, tav bi hezkirin wê ber bi bilindahîyê ve derdixe.*"

Ew halê tewazûyê ku Heq Teala xwestiye di evdên xwe de bibîne, ji bo gihiştina mizgînîyên îlahî wesîla naîlîyetê ye. Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**..** (Resûlê min!) **Mizgînîyê bide wan însanên bi îxlas û mûtewazî! Ew kesên wisa ne ku dema Ellah tê bibîrxistin dilên wan dilerizin; li hemberî tiştên ku hatine serê wan sebr dikin, nimêj dikin û ji wan tiştên ku me wek rizq dane wan jî** (ji bo Xuda) **xerc dikin**." [25]

Ji lewma îxlas û tewazû, di bicihanîna wezîfa me ya evdînîya ji bo Heq de xwedî ehemmîyeteke heyatî ne.

## ŞÛR, STÛYÊ YÊ KU STÛYÊ WÎ HEBE JÊDIKE ...

Însanên mûtewazî ku ji îddîaya hebûn û ezperestîyê dûr in, ji gellek xeterên manewî emîn dibin. Hezretê Mewlana vê heqîqetê bi vê teşbîhê îzah dike:

"*Şûr, stûyê yê ku stûyê wî hebe, jêdike.. Ji ber ku sih li erdê hatiye raxistin, hîç ti derbeke şûr ji bo qelaştina wê miweffeq nabe.*"

25. Hecc, 22/34-35.

Ji bilî vê jî ew tewazûya heqîqî ku ji hêla maneyî ve xwediyê xwe bilind dike, ji bo zêdebûna hikmet û marîfeta mirovî û ji bo vebûna besîreta wî jî dibe wesîle. Mewlana di vê manayê de di *Mesnewî*-yê de wiha dibêje:

"*Heke tu di sûret de bi sebeb tewazûyê nizm bibî jî, Xuda wê ji bo çavê te besîreta dîtina rast îhsan bike. Êdî tu dê bi eşkerehî heqîqeta her tiştî bibînî, tu wê ji bo sirrê vê hedîsa şerîf «Xudayê min, heqîqeta her tiştî wekî heyî ji me re şanî bide.» mûttelî bibî.*"

Tewazû; merhemet, xizmet û comerdiyê diwelidîne. Însanê mûtewazî, ehlê xizmetê ye, bimerhemet e, bişefqet e. Dijberê vê jî însanê ji tewazûyê bênesîb jî, bikibr e, xesîs e, ji lutfên îlahî mehrûm e.

**Îmam Şaranî** di berhema xwe ya bi navê "**el-Behrû'l-Mewrûd**" de wiha dibêje:

"*Di dîwaneke manewî de, ewê ku zehftir îstîfade dike, ew kes e ku li wir zehftir tewazû û mehwîyetê şanî dide. Lewra rehma îlahî, tim û daîm li ser dilê kesên feqîrû'l-meşreb û mûtewazî nazil dibe. Ma em nabînin ku avên baranê jî tim û daîm di koncal û deştan de kom dibin û di best û cobaran de dikişin.*"

## HALÊ TEWAZÛYA MEZINÊ ME

Mezinê me Pêğember (dirûd û silavên Xuda lê bin) dibêje:

*"Ellah Teala wehî ji min re şand, ji min re got; «li hemberî hev wisan dilnizm bibin ku hîç yek ji we li hemberî yê din ji heddê xwe nebûre û zulmê lê neke. Dîsa bila hîç ti kes li hemberî yê din xwe mezin neke û bi çêtirbûnê zirtê xwe nede.»"* [26]

26. Mûslim, Cennet, 64.

Ew Mezinê me ku hatibû şandin ji bo exlaqê xweş temam bike, ji bo banga azad û koleyan îcabet dikir, wî hedîye qebûl dikir çendan ew qurtek şîr bûya jî û bi dana hedîyekeke wekî wê jî pêşwazî li wê hedîyê dikir. Mezinê me di xusûsa li ber çavan girtina daxwazên însanên carîye, yan jî feqîrên ku di nav civakê de nehêja û biçûk dihatin dîtin de jî titîzîyeke mezin şanî dida.

Dema Mezinê me bi eshabê xwe re ber bi Bedrê ve derket rê, ji ber ku hijmara hêştiran têrê nedikir, sê kes bi dor li hêştirekê siwar dibûn. Mezinê me Fexrê Kaînatê jî bi nobet ew, **Hezretê Elî** û **Ebûlubabe** li hêştira wî siwar dibûn. Dema dora peyabûnê giha Mezinê me, hevalên wî jê re gotin:

"-Ey Resûlê Xuda! Ji kerema xwe hûn siwar bibin! Emê di şûna Te de jî birêve biçin." Resûlûllah jî got:

"-*Hûn di birêveçûnê de ji min ne bi tehemmultir in. Ji bilî vê jî ez di xusûsa sewab qezenckirinê de ne ji we mûsteğnîtir im*." [27]

Fetha Mekkê, di piştî ku mislimanan bîst salan êş û îzdîrab kişandibû û zulm û zordestî dîtibûn de mezintirîn serkeftin bû ku Cenabê Heq ji wan re lutf kiribû. Lêbelê Mezinê me Resûlûllah, ne bi îşareta serkeftinê çû nava Mekkê belkû ew li ser pişta hêştira xwe wek secdebir û bi edaya şukrê çû navê. Wî ji bo derketina li hemberî ez-ezîtîyeke (enanîyet, ezperestî) cuzî jî ev nîyaz dikir:

"*Ey Xudayê min! Heyat, bes heyata axretê ye!*" [28]

Roja Fetha Mekkê, ew hevbajarîyê Wî yê ku ji ber heyecan û sawê dilerizî û jê re digot:

"-Ey Resûlê Xuda! Îslamê li min hîn bike!" Wî ji dema lawaztirîna îmkanên xwe mîsal dianî, ew teskîn dikir û jê re digot:

---

27. Îbnû Sa'd, II, 21.
28. Waqidî, II, 824; Buxarî, Rîqaq, 1.

"*Sakin bibe, birayê min! Ez ne şah, yan jî padîşah im. (Wî bi vê peyva xwe dêya xwe ya mûhtereme qesd dikir) Ez sêwîyê cîrana te ya berê me ku ji Qureyşîyan wê ji goştê li ber tavê hişk-kirî dixwar.*." Bi vê helwesta xwe wî tewazûyeke wisan esîl şanî dida ku kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wî.

Dîsa di aynî rojê de wî ji bo Ebûbekr ê ku bavê xwe yê yextiyar danîbû ser qolîka xwe, anîbû hizûra wî û jê dixwest ku îmanê ji wî re telqîn bike, digot:

"*-Ya Ebûbekr! Te çima ev yextiyarê bavê xwe heta bi vir anî? Ma me nikarîbû biçe cem wî?!.*"[29]

Mezinê me li hemberî mirovên ku ew zehf zêde tazîm dikirin jî ev îqaz dikir, ji wan re digot:

"*Hûn min ji wê dereca ku heqê min e, zêdetir bilind nekin! Lewra Ellah berîya min bike «Resûl» ez ji xwe re kiribû me «evd».*"[30]

## HALÊ TEWAZÛYA SEHABÎYAN

Ew nifşa sehabîyan ku di jêr terbîya nebewî de gihane jî bi awayekî mûstesna û cihêwaz nesîbê xwe ji halê tewazûya Resûlê Xuda wergirtine.

**Hezretê Ebûbekr** digel ku ew bi îfadeya Resûlê Xuda; *"duduyê duduyên ku sisêyê wan jî Ellah e!"* [31] bûye û dîsa digel ku Mezinê me di bara wî de gotibû: "*Ebûbekr ji min e, ez jî ji wî me..*" [32] dema ew ji bo xelîfetîyê hate bijardin, wî di xutba xwe ya pêşî de wiha got:

29. Li Ehmed, VI, 349; Heysemî, VI, 174; Îbnû Sa'd, V, 451'ê binêrin.
30. Heysemî, IX, 21.
31. Li Buxarî, Tefsîr, 9/9'an binêrin.
32. Tirmizî, Menaqîb, 20.

“*Gelî mirovan! Digel ku ez ne qenctirînê we jî ez li ser serê we wek emîr hatime tayînkirin*.” Digel dîrayeta bilinda wî di wezîfa wî de jî wî lutf û îhsana Heq Teala hêvî dikir û ew ji tewazûyê mûsteğnî nemaye.

❁

**Selman**, dema ew walîyê Medaînê bû, bazirganek ji Şamê hatibû. Dema bazirgan li hemalekî digerîya ji bo barê wî hilgire bibe, Selman derketibû hemberê wî û ebayek jî li ser pişta wî bû. Ji ber ku bazirganî ew nas nekiribû jê re gotibû:

“-Were, vî barî hilgire bibe!”

Selman jî ew bar danî ser pişta xwe. Dema xelkê walî dît ku wa ye barê yekî hildigre û dibe, derhal rewş ji bazirgên re îzah kirin. Bazirganê navdar jî di cih de uzr jê xwest, heke çi qeder wî xwest rahêje barê xwe jî Selman dîsa ev bersiv dayê:

“-Zirara wê nîn e, heta ez barê te nebim mala te, ez wî ji ser pişta xwe nadeynim.” [33]

❁

Mûezzinê Pêğember **Bîlal** mirovekî çermreş (zencî) bûye. **Ebûzer** di dema hêrsbûnekê de jê re gotibû; “hey kurê jina reş!” Ji lewma Mezinê me Pêğember ji wî aciz bûbû.

Ma‘rûr bin Suweyd halê Ebûzer ê piştî vê bûyerê wiha vedibêje:

“Ez rojekê li Ebûzer rast hatim. Cileke giranbiha li ser wî bû. Dema min dît ku aynî cil li ser koleyê wî jî heye, min sebebê vê ji wî pirs kir.

33. Îbnû Sa‘d, IV, 88.

Ebûzer ji min re got, min di zemanê Resûlûllah de heqaret li kesekî kir û min ew ji ber dêya wî eybdar kir. Vêca Pêğember ji min re wiha got:

“*Tu kesek wisa yî ku hê jî xuyek ji xuyên cahîlîyetê pê re heye! Ew xizmetkarên we ne, di aynî demê de ew birayên we ne. Xuda ew ji bo hîmaya we dane. Naxwe di hîmaya kî de birayekî wî hebe, bila ji xwarina ku jê dixwe bi wî bide xwarin û ji cilên ku li xwe dike li wî jî bide kirin. Tiştên ku ew nikaribin di bin de rabin li wan bar nekin. Heke hûn li wan bar bikin jî arîkarîya wan bikin*.” [34]

## DI TEWAZÛYÊ DE ÎTÎDAL

Di tewazûyê de zêde çûn jî, însanî ya dixe zilletê, yan jî wî ber bi kibreke ne rasterast ve dibe. Tewazûya eslî, manen karê însanê bi sewîye ye. Ewên ku digel ne wiha ne jî wekî ku wiha bin hereket dikin, naxwe hereketa wan di bin kirasê tewazûyê de xwe mezinkirin û rîyakarî ye.

**Şêx Sadî** çi xweş dibêje:

“Wekî fistaqê ewê ku zen dike di wî de cewherek heye, wekî pîvazê tim qaşilê derdixe.

Li gorî vê, ew kesên ku digel ev wesfê tewazûyê di wan de nîn e jî lêbelê; ew vî wesfî bikartînin her wekî ku di wan de heye, ew îfadeyên ku di bara tewazûyê de bikartînin tev, ji bo rîyakarîyê nimûneyeke dî ne.

Rewşa wan aynî wekî rewşa wan daran e ku hê fêkîyên wan negihabin lêbelê ew çiqilên xwe ber bi erdê ve bitewînin û fêkîyên xwe ji însanan re îkram bikin; bes însanên bijarde, biaqil û xwedî

34. Buxarî, Îman, 22, Îtq, 15; Mûslim, Eyman, 40.

îlm û hikmetê mûtewazî û xwedî îkram dibin. Naxwe divê însan, ji rîyakarî, şohret û heybeta nefsanî bêhtir, alema navxweyî ya xwe bike xezîneyeke wisan ku hemû heyber karibin jê îstîfade bikin.

Hinek însan jî ji bo bikin ku însan di bara wan de bibêjin; "çi însanekî mûtewazî ye" bi meqsûda tetmînkarîya nefsanî xwe mûtewazî şanî didin. Ev halê rîyakar, di esl û esasê xwe de ji "**fexra tewazûyê**" yanî dîmena tewazûyê jê re hatiye dayîn lêbelê ew bi xwe kibr e.

Mesela peyvên wekî; "-ez feqîrê, acizane, lêbelê min karî ev qeder xêr û hesenat bikim, wiha û wiha îbadetên min hene." ğurûr û kibr e; lêbelê kirasê tewazûyê li xwe kiriye û xwe di bin şeklê wê de veşartî ye.

**Hezretê Hesenê Besrî** wiha dibêje:

"*Kesê ku di nav însanan de zehf zemma (bi xirabî behsa) xwe bike, di heqîqetê de wî pesnê xwe daye. Ev jî yek ji elametê rîyakarîyê ye.*"

Ji lewma di tewazûyê de zêdeçûn jî tehlûkedar e. Lewra kibr û ğurûr, bilindbûnê zahirî ne. Ew nefsê qelew dikin û rûh jî dimirînin. **Hezretê Mewlana** di vê xusûsê de wiha îqaz dike:

"*Wekî kole mûtewazî bibe û wekî hesp li erdê birêve here. Wekî tabûta ku li ser milan birêve diçe, ranebe xwe bilind neke. Nefs, ji bo zehf pesindanê bû Firewn. Tu, dilnizm bibe; (tu çi qeder mezin bî jî dîsa) xwe mezin neke!*"

Tewazûya eslî, nefsê li hemberî Heq dixe meqamê evdînîyê, li hemberî xelkê jî dixe meqamê însafê. Wate tewazû ev e; mirov ji bo fermanên Xuda bi semîmîyet îtaet bike, qusûr û aczîyeta xwe îtîraf bike û rîayeta heqên însanan jî bike, peyvên rast ên wan qebûl bike, di xusûsa heqîqetan de jî xwe ji ketina înada nefsanî biparêze.

Çawa **Fûdeyl bin Îyaz** -rehma xuda lê be- wiha dibêje:

"*Tewazû ev e; çi ji cahilî be, çi ji zarokî be, dema tu rastî û heqîqetê bibihîzî, tu jê re stûxwehr bibî û wê qebûl bikî.*"

## DI TERBÎYA MANEWÎ DE ÎKSÎRA TEWAZÛYÊ

Di gotineke pêşîyan de hatiye gotin; "Tewazû, dişibihe nêçîrvanê ku nêçîra şerefê dike." Bi rastî di dan qezenckirina îzzet, şeref û mertebên manewî de wasîteyeke din bi qasî tewazûyê kartêker nîn e.

Dijberê vê jî ajotina (kudandina) doza kibr û ezperestîyê, xuyeke xirab e. Heta tu bibêjî bes, ew Cenabê Heq tîne ğezebê û hêrs dike.

**Hezretê Ebûbekr** di vê xusûsê de wiha dibêje:

"*Dema evd, bi sebeb tiştekî ji nîmetên dinyayê xwe mezin dike Ellah Teala, buğzê her li wî evdî dike heta ew nîmet ji (dest) wî biçe.*"

Di terbîya manewî de jî pêşî mirov bi tezkîya nefsê destpê dike. Xuya xirab a ku nefs, zehf zor dikare terk bike jî; kibr û ezperestî ye.

**Ebû-haşîm es-Sûfî** ku ew bi xwe, yek ji mûtesewwifên pêşî ye, wiha gotiye:

"*Kolana kibra ku cihê xwe di qelb de çêkiribe (û ji qelb avêtina wê), ji kolana çîya ya bi derzîyê zortir e.*"

Lêbelê heta mirov nikaribe vê bike jî ne mûmkin e, mirov karibe ji hêla maneyî ve tekamul bike û bibe ew însanê kamil ê ku dîn pêkanîna wî ji xwe re kiriye ğaye û hedef.

Wekî **Hezretê Mewlana** gotî:

“*Heke kesek, ji xwe here û bigihîje tinebûnê, heke tinebûn ji wî kesî re bibe zîneteke manewî, ew kes wekî Hezretê Mûhemmed, siha wî namîne. Yanî ew kes ji xeyalî û hebûna sihê xilas dibe*.”

Çi bedbextîyeke mezin e! ku eslê wî tinebûn e, yanî ew însanê ku ji tinebûnê hatiye, radibe bi pey doza hebûn û ezperestîyê dikeve. Hemû palpiştên dinyewî û çêj û tamên nefsanî jî xefkên îmtîhanê ne, ew zemînê hazir dikin ji bo evd bikeve vê ğefletê. Kesên meğrûr ên ku dikevin vê xefkê, wekî wan masîyan e ku ji bo lezzeteke nagihan a êmê bi şewkê masîgirî ve xwe ber bi helakê ve dikişkişînin.

**Hezretê Mewlana** vê rastîyê çi xweş îzah dike:

“*Hebûn û ezperestî, însanî baş serxweş dike; aqilê wî ji serê wî, hesta şermê ji dilê wî dibe.*

*Şeytan jî bi ber bayê vê serxweşîyê ket û got; «çima bila Adem ji min çêtir be; bila reîsê min be?» vêca lanet lê hate barîn*.”

Ji vî cîhetî ve paqijkirina nefsê ji afeta kibrê û avêtina wê, wezîfekeke heyatî ye.

**Hezretê Hesenê Besrî** dibêje:

“*Tewazû ev e; tu li kîjan mislimanî rast werî, tu qebûl bikî ku ew ji te çêtir e*.”

Siltanê arifan, **Hezretê Şahê Nexşebend** di salên pêşîn ên întîsaba xwe de, wî ew rêyên ku însan di wan de hatine û çûne, temîz kirine û xizmet ji nexweşan, nekareyan, heta ji heywanên birîndar re jî kiriye. Bi vî awayî, wî kiras û ebayê tewazûyeke mezin û hîçbûnê li xwe kiriye. Çawa wî bi xwe jî îfade kiriye ku ew bi bereketa van xizmetan ji bo gellek mertebên manewî naîl bûye. Ev malikên wî ku her wekî sirrên wan tecellîyan e ku ew ji bo wan naîl bûye, îfade dikin jî, pirr manedar in:

*Alem genim, ka me ez,*

*Herkes çak e, yeman ez!*

(Yanî her kes temam e, ez xwedî kêmasî me)

Ha piştî însan digihîje vê qiwama qelbî, ji nû ve ew dikeve ser rêya tereqqîya manewî ya eslî. **Hezretê Mewlana** wiha gazî mirovên ku gihane vê qiwama qelbî, dike:

"*Heke tu bikevî ser rê, wê rê ji te re vekin. Heke tu tine bibî, wê te bi hebûnê bigihînin.*

*Ayneya hebûna te çi ye? Ayneya hebûna te nîn e.*

*Ey evîndarê Heq! Heke tu ne ehmeq bî, tinebûnê bibe hizûra Heq*."

Ne mûmkin e, mirov karibe bi ğeflet û siqleteke wekî kibrê manen mesafê bistîne. Lewra wekî ku **Hezretê Hacî Bayram Welî** jî gotiye:

"*Kibr, wekî kevir e ku bi newqê ve hatibe girêdan. Mirov, ne dikare bi wî re sobarîyê bike, ne jî dikare bifire!*"

Ji lewma dostên Heq, ji bo karibin nefsa xwe tezkîye bikin pêşî cilên hebûn û ezperestîyê ji xwe kirine, cilên tinebûn û hîçbûnê jî bi semîmîyeteke mezin li xwe kirine. Lêbelê ew piştî van merhelan ji bo siltantîya maneyê naîl bûne.

Çawa **Hezretê Hudayî** yê ku ber-alî daye padîşahên cîhanê jî dema ji bo terbîya manewî ji **Hezretê Uftade** re întîsab kir, jê hatiye xwestin ku ew berî her tiştî terka palpiştên dinyewî û nefsanî bike. Di vê meyanê de digel ku ew qazîyê Bûrsa'yê bû jî jê re hatibû gotin; bi xeftanê xwe yê bi xeml û rewş cîgeran bifiroşe. Di piştî vê de jî xizmeta temizkirina xela'ya (tiwaleta) dergehê jê re hatibû dayîn.

Dîsa dostê mezin ê Heq, Hezretê Xalidê Beğdadî jî dema ew di mewqîîyê tava alema îlmê de bû, li ber destê **Hezretê Dehlewî** li ser çokên xwe rûniştiye û ew wezîfa temîzkirina xela'yê ya ku pê hatibû sipartin bi titîzî anîye cih. Bi vî awayî, wî taca tewazû, tinebûn û hîçbûnê daye serê xwe, di netîcê de ew ji bo îltîfatên seydayê xwe û ji bo îkramên manewî bûye mezher.

**Welhasil,** ji bo gihan û kemala manewî îcab dike ku em hîç ti zemanekî lîbasê tewazûyê ji xwe nekin. Evdînîyeke bê tewazû, evdînîyeke nuqsan û îlletdar e. Ezperestî û kibr jî, wekî ku di mîsala Şeytan -eleyhillane- de jî wisa ye, yek ji afetên tehlûkedartirîn e ku dikare însên heta bi kufrê jî bibe.

Dostên Heq, ji ber ku fezîleta tewazûyê ji bo xwe kirine destûra heyatê, ew ji bo nîmetên mezin ên Heq bûne mezher û bûne strên asîmanê manewîyatê. Wan bi selahîyeta manewî ya ku pê gihane çawa di dirêjahîya emrê xwe de ji bo îrşada însanan xebat kirine, aynî wisan di piştî emrê xwe yê fanî de jî li ser îrşadê dewam dikin.

**Rebbê me, ji keş û hewa'ya dilê wan dostên Heq ên ku bi tewazû, tinebûn û hîçbûnê hatine bilindkirin, paran ji qelbê me re îhsan bike. Ji bo me hêsan bike ku em karibin evdînîya xwe û heddê xwe zanibin û em karibin wezîfa xwe û mesûlîyeta xwe bi kemala edebê bînin cih!**

**Amîn!..**



# Li Hemberî Cahil û Nezanan Sebr û Tehemmul

*Însan keviran diavêjin dara bifêkî. Çawa divê dara bifêkî ji bo kevirên ku wê li wê bibarin bi hazirî be, divê mûmînên kamil jî li hemberî wan êş û azarên ku wê ji însanên cahil û hov werin wan jî wilo hazir bin. Ji bo riza'ya Heq xwe dana ber ezîyet û cefa'ya însanan, şiûreke bilinda îmanê ye.*

*Hezretê Mewlana tecellîyên îlahî yên li kaînatê bi nêrîna hikmetê dixwendin, ew dibêje:*

*"Gulê, ji ber ku xwe daye ber hevaltîya strî û sebr kiriye, rayîha'yeke (bêhneke) zehf xweş û rengekî letîf jê re bûye nesîb."*

# LI HEMBERÎ CAHIL Û NEZANAN SEBR Û TEHEMMUL

Xêr û şer, heq û batil, rast û xwehr bi saya nimûneyan di îdraka însên de digihîje netbûnê. Dostên Heq ku bi feyz û rûhanîyeta Qur'an û Sunnetê dijîn, ji bo me qistaseke fiêlî ne, yanî her yek ji wan ji bo me nimûneyeke zindî ye. Divê em tim û daîm halê xwe li ber halê wan biwezinînin û em hewl bidin ji bo wekî wan bibin xwedî dilekî ji feyz û rûhanîyetê tije.

Lewra dostên Heq ku warisên Pêğember in, ew zirweyên mûkemmelîyeta bizavan û îrşada nebewî ne, ku li ser zemanan hatine weşandin û belavkirin. Yanî ew, ji bo mirovên ku bi şerefa dîtina Hezretê Pêğember û eshabê wî negihane, şexsîyetên bilind in ku divê ew nimûne werin girtin. Îrşad û nesîhetên wan jî ku bi lîsanê wan ê rehmê dilan îhya dikin, di esasê xwe de şevnemên rûhanîyetê ne, ku ji serkehnîya nebewî dizenzilin û tên.

Yek ji wesfê fariq ê dostên Heq jî ev e; ew li hemberî ezîyet û cefa'ya ku ji cahilan, nezanan û însanên hov ên ku rêw-resman nizanin tên, sebr dikin û ji bo îrşada însanan tim û daîm di nav xelkê de dibin.

Wekî hemû fezîletan mekteba bilindtirîna ku ev fezîlet jî têde bi awayê mûkemmeltirîn were tehsîlkirin şexsîyeta nimûneyî ya Mezinê me Hezretê Pêğember e.

## SEBR Û TEHEMMULA MEZINÊ ME PÊĞEMBER

Mezinê me Resûlê Xuda ku wek şexsîyetekî nimûneyî ji bo însanîyetê hatiye lutfkirin, di dirêjahîya emrê mûbarek ê xwe de her xwe daye ber çendîn cefayên giran û ew di çembera çîle û janên bêjimar de derbas bûye. Lêbelê ew ezîyet û cefayên ku wî di rêya Xuda de xwe dabû ber wan bi ti awayan ew bêzar nekirin û mûwazena dilê wî xirab nekirin. Lewra dilê letîf ê wî, tim û daîm riza'ya Rebbê xwe dixwest, piştî ku Ew jê razî bûbe, ezîyetên ku ji fanîyan dihatin wî jî jê re ne derd û ğem bûn.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Stûyê xwe ji kafir û mûnafiqan re xwehr neke! Giringîyê bi ezîyetên wan nede! Xwe bispêre Xuda, Xuda wek wekîl û destek bes e**." [35]

Bi sebrê, tehemmulkirina Resûlê Xuda li hemberî ezîyet û cefayên ku ji însanan dihatin, çawa xebera wê sebr û tehemmula wî di kitêbên mûqeddes ên berê de jî hatibû ragihandin, ew yek ji elametên pêğembertîya wî bûye.

Çawa **Zeyd bin Sa'ne** jî ku ew berê yek ji alimên cihûyan bûye, wî di kitêbên semawî yên berî Qur'anê de xwendibûye ku ew Pêğemberê Dawîn ê ku hatina wî tê payin xwedî xusûsîyeteke wiha ye. Her cara ku Zeyd bin Sa'ne li Mezinê me Pêğember dimeyzand, temamê elametên pêğembertîyê têde didîtin, wî ev jî meraq dikir, ji xwe re digot; "Ma bi rastî ew, mirovên ku li hemberî wî bi ziman-dirêjî hereket dikin jî efû dike? Gelo çi qeder ziman-dirêjî û hovîtî li hemberî wî zêde dibin ew qeder helîmtî û mûsamehakarîya wî jî zêde dibe?" Wî di vê xusûsê de Mezinê me Pêğember ceribandiye

35. Ehzab, 33/48.

û piştî wî dît ku bi rastî ew wisa ye, vêca bi qelbekî mûtmein ji bo şerefa îmanê naîl bûye.[36]

Resûlê Ekrem di rêya doza xwe ya heq de sade ne li hemberî ziman-dirêjîyên ku ji ğeyrê mûsliman û mûnafiqan sadir dibûn; lêbelê wî li hemberî zimandirêjî û bed-devîyên nû mislimanên ku hê zarafet û nezaketa Îslamê baş fehm nekiribûn, sadir dibûn jî bi sebreke mezin tehemmul şanî dida.. Wî li hemberî vê xîtab û banga xeber-tehla bedewîyên neşehreza yên ku ji çolê hatibûn, ya çendîn caran a bi qîrewîr digotin:

“Ho Mûhemmed! Ho Mûhemmed!” Wî jî di her seferê de bi uslûbeke nerm bersiva wan dida, ji wan re digot:

“*-Kerem bikin, hûn çi dixwazin?*” Yanî wî digel xeber-tahlîya mûxatebên xwe jî ti wext û gavê dernediket derveyî pîvanên nezaketê.[37]

Dîsa bedewîyek ji çolê hatibû, li Mizgefta Nebewî mîza xwe kiribû. Sehabîyan destpê kir li erza wî zilamî da. Lêbelê Mezinê me Pêğember jî ji wan re got:

“*-Wî ji halê wî re bihêlin. Dêwlek av jî li ser şûna mîza wî birijînin. Hûn hatine şandin ji bo hêsankarîyê şanî bidin; ne ji bo zehmetkirinê.*” [38]

Ha ev halê Pêğemberê rehmê, bûye tuxmê bi bereket ê çendîn hîdayetan.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

---

36. Hakim, III, 700/6547.
37. Li Mûslim, Nuzur, 8; Ebûdawud, Eyman, 21/3316; Tirmizî, Zuhd, 50; Ehmed, IV, 239’an binêrin.
38. Buxarî, Wudû, 58, Edeb, 80.

"(Resûlê min!) **Ew dem, bi rehmeke ji Xuda te, bi nermahî bi wan re hereket kir! Heke tu, yekî xebertehl û dilhişk bûyayî, bêşiwar ewê ji hawîrdora te belav bibûna û biçûna. Naxwe li wan bibûre; lêborîna gunehên wan ji Xuda bixwaze**." [39]

Mezinê me Resûlê Ekrem di rêya Xuda de xwe dabû ber tengasîyên curecur, dema ew di doza xwe de biserket û Xuda qewet û zafer ji mislimanan re lutf kir jî ew hîç nefikirî ku xwe bide kenarekî û bi vî awayî xwe ji ezîyeta însanan xilas bike.

Rojekê ew bi komeke qerebaliğa sehabîyên xwe re li ser çokên xwe rûniştibû û xwarin dixwar, bedewîyekî ew di vî halî de dît lêbelê ev halê wî hîç neeciband û got:

"-Ev rûniştineke çawa û çi deradet e!" Wî bi vî awayî ecêbmayîna xwe li hemberî edeba bilinda Mezinê me îfade kir. Resûlûllah jî got:

"*Ellah Teala, ez wek evdekî bi şeref aferandime (ez kirime evdekî mûtewazî), ez nekirime zordarekî înatkar!*" [40]

Yanî wî eşkere kir ku ewê ti caran wekî mirovên meğrûr û kibrdar hereket neke. Mezinê me, bi rûhê zirav û hessasê xwe ku ji bo temamê însanîyetê timsala nezaket û zarafetê bû, bi vî awayî îşaret pê dida ku çênabe sifetên xirab ên wekî zordar û înadkar di şexsîyeteke mûmîn de hebin.

**Hezretê Ebbas ê** mamê Mezinê me Pêğember jî bi heşrneşrbûna birazîyê ezîz ê wî bi mirovan re û bi curecur ezîyet û azarên wan re rûbirû hatina wî lê zor dihat. Ji bo vê ji Mezinê me Fexrê Kaînatê xwestibû ku li ser textekî bilind rûne, hîç nebe jî ji qismekî van tengasîyan xilas bibe. Lêbelê Mezinê me jî gotibû:

---

39. Alî Îmran, 3/159.
40. Ebûdawud, Et'îme, 17/3773.

"*-Na! Heta Xuda min ji navbera wan nestîne, negihîne hizûra xwe, ezê her li navbera wan bim. Bila ew pêl pehnîyên min bikin, bila ew cilên min bikişînin, bila ew bi tozên ku rakirine, min narehet bikin!*" [41]

Wî mûmîn jî wiha îqaz kirin:

"*Mislimanê ku bikeve navbera însanan û xwe bide ber ezîyetên wan, ji mislimanê ku nakeve navbera wan û xwe nade ber ezîyetên wan, çêtir e.*" [42]

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

"*Baznedana heyvê ji ber şeva tarî, sebr-kirina wê, nûrê dide wê, ronahîyê dide wê. Gulê, ji ber ku xwe daye ber hevaltîya strî û sebr kiriye, rayîha'yeke (bêhneke) zehf xweş û rengekî letîf jê re bûye nesîb.*

*Hemû pêğemberan ji ber ku xwe dane ber ezîyet û cefa'yên însanê ku bawerî bi wan neanîne, yan jî cahilan, sebr-kirina wan, ew kirine evdên xas ê Heq, manen ew kirine siltanên mûzaffer.*

*Heke tu karibî (sipehî) sebr bikî, ewê ji te re bibe qenaet, wê te ber bi bilindahîyan ve bilind bike! Li Hezretê Mûsa binêre! Sebr ji wî re bû bûraq, bû Mîrac, bû Sidretû'l-Mûnteha jî, Ew ji asîmanan bi mawera (biwêdetir) ve bilind kir, ew Bi Heq re mûlaqî kir.*"

Mezinê me Hezretê Pêğember ji ber ku dilê wî bi ummeta wî ve bû, wî di vê oğirê de hemû zehmetîyên ku kişandine ji bîr dikirin. Di rêya xilasîya ummeta wî de ti zehmetîyekê ew bêzar nedikir, wî bi qasî zerreyekê jî gileh û gazind ji ezîyetên ku ummeta wî dabûnê nedikir, wî tim û daîm ji Rebbê xwe nîyaza *"ummetî, ummetî"*

41. Îbnû Sa'd, II, 193; Heysemî, IX, 21.
42. Tirmizî, Qiyamet, 55/2507.

dikir. Lewra wî ji bo seadeta ebedî ya ummeta xwe terka rehetîya xwe kiribû.

## SEBR Û TEHEMMULA DOSTÊN HEQ

Dostên Heq warisê Pêğember jî dilê wan ji bizavên ne şehreza, xeta û qusûrên ku însan li hemberî wan şanî didin namîne, ji bo îslaha wan ji dil û can xwe didin ber her cure zehmetîyan. Lewra ev hal, mûqteza'ya (lazimiya) îlm û îrfana rasteqîne ye.

Wekî ku **Îbrahîm Heqqî-yê Erzêromî** gotiye:

"*Adetê welîyan; li hemberî mûsîbetan razî ne, li hemberî dijwarîyan bi sebr in, di dema lerzeyan de weqûr in.*"

"*Serê îlmê, xuy-nermî ye; serê hikmetê bi însanan re baş bûrandin e.*"

Ji lewma xwe nedana ber ezîyetên însanan û tehemmul-nekirin şanîdan, netîceyeke bê nesîb-bûna ji hikmetê û cehaletê ye. Însanê xwedî îlm û îrfan çawa zarîf û nazik dibin, însanê ji hikmetê bênesîb û cahil jî wisan hov, xwedğem û ji edebê mehrûm dibin. Bêxeberbûna ji nezaket û zarafeta dîn, yek ji cehaletên bifecaettirîn e.

**Îbnû Ebbas** di bara vê ayeta pîroz:

"**Qencî û neqencî wekhev nabin. Rêya sipehîtirîn çi be, tu** (neqencîyê) **bi wê asteng bike. Ew dem tu yê bibînî ku wa ye ew kesê di navbera te û wî de dijminahî heye jî** (ji te re) **bûye her wekî dostekî nêzîk.**" [43] de ev îzahat kiriye, gotiye:

"*Ji «**rêya sipehîtirîn**» a ku di ayetê de hatiye îfadekirin meqsed, sebra di dema hêrsbûnê de û efûya di dema rûbirû hatina li hemberî*

43. Fussîlet, 41/34.

*xirabîyê de ye. Heke însan van bikin Xuda wê wan mûhafeze bike, dijminên wan jî wê ji wan re stûxwehr bibin. Ew dibin her wekî dostekî semîmî.*" [44]

**Enes bin Malik** jî di bara tefsîra vê ayeta pîroz:

"**Ew dem tu yê bibînî ku wa ye, ew kesê di navbera te û wî de dijminahî heye jî** (ji te re) **bûye her wekî dostekî nêzîk.**" [45] de gotiye:

"*Ew, înasenekî wisan rûh zirav û zarîf e ku heke yekî dîger peyvên xirab jê re serf bike jî dibêje; «heke tu rast dibêjî Xuda min efû bike, heke tu derewan dibêjî Xuda te efû bike.» û bi vî awayî bersiva wî dide.*"

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

**"Evdên** (xas ên) **Rehman** (ewên ku rehma Xuda di wan de tecellî dibe) **ew kes in ku li ser erdê bi tewazû birêve diçin û dema xwe nezan peyvan diavêjin wan** (ew bê êşandin ji wan re) «**silav!**» **dibêjin** (derbas dibin) ..." [46]

Dostên Heq jî guhê xwe nadin cahilên xwe nezan û bi wan re nakeve nîqaşan. Lewra ev, wan nezanan ber bi înadeke nefsanî re dibe û ew dizanin ku evê bibe sersebeb ku wan ber bi zirareke mezintir ve bikişkişîne.

Di vê xusûsê de **Hezretê Elî** vê îqazê dike:

"*Ji bo peyva ku bi nizmî hatiye kirin zinhar nebêje ez bersiv bidim!.. Lewra di xwediyê wê peyvê de çendîn peyvên din ên wekî wê nizm hene. Ewê dîsa bi wan îfadeyên nizm bersiva we bidin.*

44. Buxarî, Tefsîr, 41/1.
45. Fussîlet, 41/34.
46. Furqan, 25/63.

*Zinhar ranebe bi yê cahil re letîfeyan (tinazan) neke! Ji ber ku zimanê wî bi jehr e, wê dilê te birîndar bike*."

**Hezretê Mewlana** jî wiha dibêje:

"*Li hemberî cahilan wekî kitêbê bêdeng bibe!*"

"*Kesê xuy sipehî ew kes e ku li hemberî gotegotan tehemmul dike, li hemberî xirabîya însanan jî kerr û kor hereket dike*."

Mezinê me Pêğember di bara vî exlaqê xweş ê evdên Heq welîyan de xebera mîsaleke pirr manedar wiha dide:

Wî rojekê ji eshabê xwe pirs kir, ji wan re got:

"*-Ma yek ji we aciz e, nikare bibe wekî Ebû Damdam?*" Sehabîyên li wir hazir wiha bersiva Resûlê Xuda dan, jê pirs kirin, gotin:

"-Ebû Damdam kî ye?"

Mezinê me Resûlê Ekrem ji wan re wiha got:

"*Ew yek, ji wan qewmên berî we bûye. Wî digot: «Ez heqê xwe helal dikim li kesên ku heqaretê li min dikin, zimanê xwe ji min re dirêj dikin û bi vî awayî ğeybeta min dikin.»*" [47]

Çi ufûqê dilekî mûezzam e.. Mehebbeta bê dawîn a ji Cenabê Heq, merhemet, şefqet, ef û mûsameheya li evdên wî bi xwe re tîne. Ew naxwazin di roja hesabê de bi sebeb wan evdên Xuda bikevin rewşeke zor û zehmet. Ew umîd dikin ku bi rehetkirina evdên Xuda bigihin rehma îlahî.

**Hezretê Îmam Ğezalî** jî di bara fezîleta xwe dana ber siqleta însanan de vê hîkayetê diguhêze:

47. Ebûdawud, Edeb, 36/4887.

Hekîmekî di bara hikmetê de 360 berhem nivîsandibûn û zen kiribû ku ew bi vê sayê ji Xuda nêzîk bûye. Xuda Teala ji pêğemberê wî zemanî re wiha wehî şand:

**“-Ji filan keso re bibêje, wî erd ji nîfaqê tije kiriye. Ez tiştekî ji nîfaqa wî qebûl nakim!”**

Vêca ew bi tena serê xwe çû kete şikeftekê, dest bi kirina îbadetê kir, ji xwe re hizirî û got; “ha ez vêga bi riza’ya Rebbê xwe giham.” Dîsa Xuda Teala ji wî pêğemberî re wehî şand, jê re got:

**“-Ji wî re bibêje, heta ew nekeve navbera însanan û xwe nede ber ezîyetên wan, bi riza’ya min nagihe.”**

Vêca ew çû çarçîyê, kete navbera însanan, bi wan re birêve çû, rûnişt, xwar-vexwar. Xuda Teala ji pêğemberê xwe re wiha wehî şand:

**“-Xeberê bide wî zilamî, ew vêga ji bo riza’ya min naîl bû.”** [48]

Heke çi qeder di tesewwufê de tekamula rûhî ji bo mûddeteke dîyar xwe kişandin înzîwayê, dest û zendên xwe ji însanan û ji meşğûlîyetên dinyayê kişandin wek temrîneke pêwîst hatibe dîtin jî, lêbelê ev jî fena rahibtîyê bi terzekî heyatê kirin hatiye menkirin. Di nav xelkê de bûn û dewamkirina evdînîyê ji Heq re bi navê “**xelwet der encûmen**” hatiye bi qaîde-kirin. Bi îfadeyeke din “**wehdet di kesretê de**” yanî di nav qerebaliğan de jî halê bi Xuda re bûnê, edebeke evdînîyê ye ku ew sewîya manewî ya mûmînî şanî dide. Dîsa bi însanan re bûna kesî di navberekê de ji bo bûna qelbê wî tim û daîm bi Heq Teala re di halê xelwetê de ne asteng e. Çawa ev vegotina ku vê rewşê: “**Dest di kar de ye, dil di yar de ye**..” îfade dike jî meşhûr bûye.

**Hezretê Mewlana** dibêje:

---

48. Îhya, II, 610-611.

“*Hîç ti goşeyeke dinyayê ne bê îbtîla û bê xefk e. Heq xistina di dilê xwe de û xwe dana ber penaha wî, ji jîyîna di hizûra manewî ya wî de pê ve xilasî, hizûr û rehetî nîn e.*”

*“Ez bi Xuda sûnd dixwim, ewê ku sebrê najî, çendan xwe bixe qula mişk jî, nikare ji pençа kitikekê xilas bibe.*”

**Mûhemmed Îqbal** fezîleta bûna di nav însanan de û bi dil-xweşî tehemmulkirina ezîyet û cefayên wan bi hîkayeteke temsîlî çi xweş îfade dike:

“Ğezaleke cahil ji ğezaleke gihayî re kul û derdan dibêje û dibilîne:

"-Ji vêga û pê de ezê li Ka‘bê (nêçîrkirin jî li wir qedeğe ye), li devera Heremê bijîm. Lewra nêçîrvanan li deştan li ber me kemîn damnîne û bi şev û roj li pey me digerin. Êdî ez dixwazim ji derdê nêçîrvanan xilas bibim, bi hizûrê bigihim.."

Ğezala tecrîbedar li van peyvên wê guhdarî dike û jê re dibêje:

"-Ey dosta aqilmenda min! Heke tu dixwazî bijî di nav tehlûkan de bijî. Tim û daîm xwe li kevirê tûjkirinê (hesan) bide. Ji şûrekî tûj û bi cewher tûjtir bijî! Sewîya îmanê bes di hemberî zehmetîyan de dîyar dibe. Tehlûke; hêza te îmtîhan dike. Ew ji me re dide zanîn ka beden û rûhê te li ser çi-yan qadir e."

Wesfekî dîtir ê evdên Heq, welîyan jî ev e; dema ew di rewşa zalim-bûn, yan jî mezlûm-bûnê de bimînin, ji bo xwe mezlûm-bûnê li ser zalim-bûnê tercîh dikin.

Çawa dema **Se‘d bin Ebûweqqas** got:

“-Ya Resûlellah! (di zemanê fitnan de) heke yek were mala min û ji bo kuştinê min tehdîd bike, hûn çi şîretê li min dikin, bila ez çi bikim?” Hezretê Pêğember jê re got:

"-*Wekî (Habîl) kurê Adem bibe!*" [49]

**Welhasil,** bi kurtî îfadeya vî wesfê dostên Heq ev e:

"Ji bo riza'ya Heq, tehemmulkirina ezîyet û cefayên ku ji bendeyên Heq werin."

Ev rewşa dostê Heq Hezretê **Marûf-ê Kerxî**, çi qeder îbretdar e:

Hezretê Marûfê Kerxî, nexweşekî li ber mirinê li mala xwe dixe mêhvan û hemû xizmetan jê re pêşkêş dike. Nexweş jî, bi dijwarîya êş û îzdîrabên xwe bi şev-roj dinale, çawa ew nikare gaveke tenê raze, aynî wisan ew bi feryadên xwe nahêle ti kes ji xelkê malê jî raze. Ji vê jî zêdetir her ku diçe teb'ê wî xirab dibe û bi xeberên giran ên xwe xelkê malê jî reht dike.

Di dawîyê de xelkê malê hew karin xwe li ber bed-teb'îya wî bigrin, yeko yeko, dudu dudu direvin diçin cihên din. Ji Marûfê Kerxî û xanima wî pê ve ti kes li malê namîne. Hezretê Marûfê Kerxî bi şevê jî ranaze û li ser temînkirina îhtiyacên nexweşî dewam dike. Lêbelê rojekê bed-teb'îya wî digihîje nuqtekeke ku hew tê tehemmulkirin û Marûfê Kerxî bi ğeyrê îxtîyarî bi xew ve diçe. Dema ew nexweşê ğafil vê dibîne, di şûna ji wî zatê ku ew bi şefqet hemêz kiribû re teşekkur bike de bi nankorî destpê dike û wiha dibêje:

"-Ev halo derwêşekî çawa ye! Ji xwe yên wekî vî di zahirî de navê wan, leqebê wan hene; di heqîqetê de jî rîyakar in. Şîreta teqwayê li xelkê dikin lêbelê ew bi xwe wê nakin. Ha ev zilam jî halê min nahizire û ji xwe re radize. Ewê ku zikê xwe têr bike û pixxênîyê ji xewê tîne, ew ji kuderê ji halê min nexweşê bêçare yê ku heta sibehê çavê wî naçin ser hev, fehm dike!.."

49. Tirmizî, Fîten, 29/2194.

Marûfê Kerxî van xeberên tehl dibihîze û li hemberî wan jî sebr dike. Lêbelê jina wî hew xwe digre û jê re dibêje, êdî vî nexweşê nankor ji malê bişîne. Hezretê Marûfê Kerxî jî bi çehreyeke mûtebessim wiha dibêje:

“-Xanimê! Çima tu bi xeberên ku ew dibêje, diêşî? Heke wî kiribe qîrewîr bi min de kiriye qîrewîr; heke bêterbîyetî kiribe, li hemberî min bêterbîyetî kiriye. Ew peyvên wî yên ku ne xweş tên dîtin jî, ew her ji min re xweş tên. Tu dibînî ku ew daîm di nav îzdîrabê de ye. De ka binêre; rebeno nikare nefeseke tenê jî raze. Hem jî tu dizanî ku esil huner, esil şefqet û merhemet, tehemmulkirina cefaya kesên wekî vî ye...”

**Şêx Sadî** jî vê qissetê di berhema xwe ya bi navê Bostanê de diguhêze û vê nesîhetê dike:

“*Qelbê ji mehebbetê tije bûbe, efûkar dibe. Heke tu, ji sûretekî rijî û ziwa tenê îbaret bî, dema tu bimrî tu wekî cismê xwe bi navê xwe jî dimrî. Heke tu bibî sahib kerem û ehlê xizmetê, emrê te, di piştî cesedî de jî bi qasî fedakarîya xwe û bi qasî ketina xwe di dilan de dewam dike. Ma tu nabînî ku li bajarê Kerxê gellek tirbe hene. Lêbelê ji tirba Marûfê Kerxî yeke marûftir (naskirîtir) û zîyaretçîyê wê zehftir nîn e.*”

**Hezretê Yûnus Emre** çi xweş dibêje:

Derwêş bêdil divê;
Ji çêrkerî re bê ziman divê,
Ji lêdankerî re bê dest divê,
Bi xelkê re beraber navê...

Wate, li hemberî ezîyet û cefaya însanan tehemmul kirin, bi sebr û xwînsarî mûqabele kirin; karê dilên derwêş-meşreb e ku dikare bi nezara Xaliq li mexlûqatan binêre. Ewên ku wekî ewamê xelkê li hemberî her qerebaliğa ku dibînin hêrs dibin û bi aynî

ğemsarîyan bersivê didin, heke ew bûbin berevanî ji heqê xwe kiribin jî lêbelê wekî lazimîya edeba tesewwufî; wan efkarî, mûsamehakarî û tehemmul şanî nedane û ew ji vê sirr û hikmeta ku Heq ew ezîyet û cefa wek cilweyeke îmtîhanê şandiye, ğafil mane..

Haleveku li hemberî bendeyên Heq (şanîdana) xesletên wekî ef, mûsameha, sebr û tehemmulê, di celbkirina merhemet, riza û mehebbeta Xaliq de xwedî qîmetekî mûstesna ne. Ji vî cîhetî ve, di exlaqê tesewwufî de ev xeslet hema bibêje ğenîmet têne zanîn.

**Hezretê Mewlana** vê heqîqetê çi xweş îfade dike:

*"Sebrkirina li hemberî xirabîyan, ji bo sewîye qezenckirina rûhanîyeta mûmînên salih wesîle ye. Li kuderê dilekî ji bo Heq têhn hebe, sebr wî dilî îhya dike.*"

Ji bilî vê jî ev exlaq, gellek caran ji bo îslaha kesên hov û neşehreza jî dibe wesîle. Feqet ewên ku hovîtîyê dikin, heke poşman nebin û di alîyê îslaha halên xwe de helwestekê şanî nedin, vê carê ewê bibin sebeb ku ew ji hêla maddî ve, yan jî manewî ve hê zehftir zirarê bibînin, heta ewê ji bo helaka xwe bi xwe jî bibin sebeb. Lewra di vê rewşê de ew hovîtîya ku ew li hemberî evdên salih dikin bizzat Cenabê Heq dê heqê wan bistîne. Di şûna evdên hezkirî yên xwe de Heq-sitandina Xuda Teala ji zaliman jî, dibe ku hinek caran bi tecellîya celalî û di sûretê întîqameke zehf dijwar de tehqîq dibe. Çawa ev qisse, wê hikmetê çi xweş îzah dike:

**Hezretê Îbrahîm Heqqî**-yê ku ji **Hezretê Îsmaîl Feqîrûllah** re xizmet dikir, ew rojekê ji bo anîna avê diçe ber kehnîyê. Dema wî dikir avê dagire, hesp-siwarek tê wir û bi dengê bilind jê re dibêje:

"-Kuro, ji rêya min derkeve!" Ew li erza Hezretê Îbrahîm Heqqî dide û hespê xwe diajoyê ser kehnîyê. Dema wî jî hewl dida raje cêrê xwe û xwe bide kenarekî, zilamî zengû li bin zikê hespê xwe da û di goşekekê de dor lê teng kir. Îbrahîm Heqqî jî dema cêrê

xwe li wir hişt û hewl da ku xwe xilas bike, hesp jî pêl cêr kir û ew perçe perçe kir.

Îbrahîm Heqqî jî dest bi girî kir û hate cem xwacê xwe, tişta ku çêbûbû jê re vegot. Xwacê wî jê pirs kir:

“-Ma te tiştek ji siwarê hespî yê ku cêr şikandî re got?” Wî jê re got:

“- Na, min tiştek jê re negot.”

Xwacê wî jê re got:

“-Naxwe, here xeberekê, du xebera ji wî zilamî re bibêje!”

Hezretê Îbrahîm Heqqî diçe, digihîje cem wî zilamê ku li ser kehnîyê hespê xwe av dida û li cemê çavnêrî dike. Lêbelê ew ji ber terbîya xwe dike û nake nikare jê re bibêje:

“-Hey zalimo, te çima cêrê min şikand!”

Dema ew bi şûn de fetilî, xwacê wî Hezretê Feqîrûllah jê dipirse:

“-Gelo te karî tiştekî jê re bibêjî?” Ew dibêje:

“-Seydayê min, min nikarî tiştekî bibêje, min nîyet kir lêbelê min kir û nekir min nikarî zimanê xwe bigerînim û xebereke giran bibêjim!”

Xwacê wî dubare û bi dengekî bilindtir pê de diqîre:

“-Ez ji te re dibêjim, zû here tiştekî ji wî zilamî re bibêje, heke na, wê dawîya wî felaket be!”

Hezretê Îbrahîm Heqqî vê carê wek biryardar bazdide diçe ser kehnîyê. Carekê dimeyzîne ku ew zilamê cêrê wî şikandî bi du-pihînên ku hespê wî lê dabûn bêbizav li erdê dirêjkirî ye. Ew

bi bazdan tê, xebera vê wezîyeta wexîm dide xwacê xwe Hezretê Feqîrûllah. Xwacê wî ji bo vê rewşê ğemgîn dibe û dibêje:

“-Wax wax, li hemberî cêrekî, zilamek!..”

Dema mirovên li hawîrdora wî jê re dibêjin; me tiştek ji vê fehm nekir, ew welîyê mezin wê wiha îzah dike:

“-Wî zilamê siwarê hespî zulm li Îbrahîm Heqqî kir. Îbrahîmê ku zulm lê hatî kirin jî bi peyveke tenê jî mûqabela wî nekir. Bi vî awayî, ew bû ku ew zalim ji Xuda re hewale kir. Ev jî li ğîreta Ellah Teala ket û wî ew zalim ceza kir. Heke Îbrahîm Heqqî li hemberî zulma wî tiştek jê re gotiba, ewê pevguherî bibûna. Feqet Îbrahîm, bi temamî mezlûm-bûn ji xwe re tercîh kir. Min jî hewl dida di nav wan de pevguherînê çêkim û wî zilamî xilas bikim. Mixabin, min nekarî mûweffeq bibim!”

Ha ew zatên arif ên ji vê sirrê waqif, naxwazin bendeyên Cenabê Heq bi sebeb wan werin cezakirin, ji bo ew bende li cem Heq di rewşeke mûşkil de nemînin, carina ew di hemberî bênezaketîya ku dibînin de çendan biçûk be jî, dixwazin bi awayê hemberdanê, wan ji rûbirû mana li ber tecellîya celalî xilas bikin..

Welhasil, mûmînên kamil, ezîyet û cefayên ku di sûret de xuya dibin ku ew ji însanan tên, hizr pê dikin ku ew cilweyeke îmtîhanê ne ji Heq tên, ew hewl didin ku di sûretê sipehîtirîn de wan tehemmul bikin.

**Hezretê Mewlana** dibêje:

“*Ew çîyayê ku di madena wî de çend zîv diravên metlûb hebin, bi derbên kolandinê ker ker dibe.*”

Wate, însan keviran diavêjin dara bifêkî. Çawa divê dara bifêkî ji bo kevirên ku wê li wê bibarin bi hazirî be, divê mûmînên kamil jî li hemberî wan êş û azarên ku wê ji însanên cahil û hov werin wan

jî wilo hazir bin. Ji bo riza'ya Heq xwe dana ber ezîyet û cefa'ya însanan, şiûreke bilinda îmanê ye.

**Cenabê Heq, ji vê fîraset, besîret, ziravî û hikmeta ku ji bo evdên xwe yên welî lutf kiriye, ji bo dilên me jî hisse û paran îhsan bike! Me tevan ji ketina ber bênezaketî, deva-vêtin û tehrîkên cahil û nezanan mûhafeze bike! Me tevan bike ji wan kesên ku bi aqilê selîm ê layiqê mûmînên kamil dijîn û bi qelbê selîm jî digihin hizûra îlahî!**

**Amîn!..**



# Bi Qencîyê Mûqabele-kirina Neqencîyê

Mûmînekî kamil, divê wekî avê ezîz û wekî deryayê dilfereh be. Divê ew bi berraqîya dilekî ku nezaket, zarafet û sipehîtahîyan dide xuyakirin, tim û daîm rûkenîya Îslamê û hizûra wê tewzî (belav) bike.

Di cejnan tenê de efûkirina qusûran û haştbûn li mûmînên kamil nayê. Lewra efûkirin û her efûkirin heta bi layiqbûna ji bo efûya Xuda, ji bo mûmînên kamil ufuqeke jênegera îmanê ye.

# BI QENCÎYÊ MÛQABELE-KIRINA NEQENCÎYÊ

Her prensîbeke dînê bilind ê me Îslamê, menzûma sipehî-tahîyên exlaqî ye ku ew ji xuyabûna îmanê ya di heyatê de îbaret e. Mezinê me Pêğember gotiye:

"*Ez hatime şandin ji bo exlaqê xweş temam bikim.*" [50]

Ji bo em karibin bibin mûmînekî kamil, îcab dike ku em di wan endazên exlaqî yên ku Îslamê emr kirine de zehf kûr bibin û em wan di her sefheyeke heyata xwe de bidin xuyakirin. Heke na, emê bibin ku me heysîyeta însanîyeta xwe xirab kiriye û me seadeta ebedî ya xwe jî zîyan kiriye.

Mezinê me Pêğember bi exlaqê bilind ê xwe, ji bo beşerîyetê medenîyeta fezîletan hedîye kiriye. Ewlîyaûllah jî warisên pêğember in, ew sunneta pêğemberan, yanî ew bi mehebbeteke mezin û sedaqet xeta fezîletê didin dewamkirin.

Di nav exlaqê nimûneyî yê pêğemberan û ewlîyaûllah de yek ji fezîletên mûhîmtirîn ev e; **ezîyet û cefayên ku ji evdên Xuda dibînin dîsa ji bo Xuda wan efû dikin û karin li hemberî qencîyên ku ji wan re rûbirû dimînin bi qencîyê mûqabele bikin**. Bi vî awayî ew, evdên Xuda bi şefqet û merhemet dixin

50. Mûwetta, Husnû'l-Xulq, 8.

seraya dilê xwe û dilên wan ê ku wêran bûne jî îhya dikin. Ev exlaq, di aynî zemanî de ji bo nefeseke dawîna sipehî jî mizgînîyek e.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Dîsa ew riza’ya Xudayê xwe dixwazin, sebr dikin, bi durustî nimêj dikin, ji wî rizqê ku me daye wan bi dizî û eşkerehî** (di rêya Xuda de) **înfaq dikin û neqenciyê bi qenciyê ji ser xwe didin alî. Ha evên ha, dawîya** (sipehî ya) **mala dinyayê, bes ji wan re heye**.” [51]

Ew kesê ku bixwaze ji bo merhemet û efûya Xuda naîl bibe, divê ew derbasbûna ji qusûrên mirovan û bi qencîyê mûqabele-kirina xirabîya ku li hemberî wî hatiye kirin ji xwe re bike şîar. Lewra ew pêğemberên ku Rebbê me ji bo însanîyetê wek rêber lutf kirine û mûrşid, alim û arifan tevan jî tim û daîm ev exlaqê xweş şanî dane.

## ÎRO GAZIND JI WE NABE!

Di bara bi ef û qencîyê îslahkirina mirovên ku xirabîyê dikin de yek ji sipehîtirîn mîsalên ku di Qur’ana Pîroz de hatiye zikrkirin, mûamelekirina Yûsuf bi birayên wî re ye:

Yaqûb -eleyhisselam- ji navbera diwazdeh kurên xwe xusûsîyetên manewî yên xwe di Yûsuf de dîtibûn û ji zarokên wî yên dîger zêdetir meyla dilê wî li ser Yûsuf -eleyhisselam- bû. Ev rewş, bûbû sebeb ku li hemberî wî di dilê birayên wî yên din de hestên çavnebarîyê zîğ bidin. Heta birayên wî qerar pê dan ku Hezretê Yûsuf -eleyhisselam- bikujin lêbelê ew avêtin bîrekê.

Yûsuf -eleyhisselam- bi wasîta karwanekî ku di wir re derbas dibû ji bîrê xilas bû. Lêbelê ew birin Misrê û li wê ew wek kole hate

51. Re‘ad, 13/22.

firotin. Ew di piştî gellek îmtîhanên giran ên jîyayî de di nav wext û zemanî de heta bi wezîrtîya xezîna Misrê bilind bû. Wî di salên ğelayê de erzaq belav dikir. Birayên wî jî hatin cemê ji bo erzaq ji xwe re bixwazin. Hezretê Yûsuf -eleyhisselam- nasnameya xwe ji birayên xwe veşart. Heke wî bixwesita di rewşeke wisan de bû ku karîbû bi rehetî întîqamê ji wan hilîne. Lêbelê wî ne ew ceza kirin, ne jî li erza wan da. Tam berevajî vê wî bêjimar qencî û îkram li wan kirin.

Wan jî li hemberî vê fezîleta ku dîtin jê re gotin:

“-Tu Yûsuf î, bi rastî Xuda tu ji me çêtir kirî.” Bi mehcûbîyeteke mezin mecbûr bûn heqîqetê îtîraf bikin. Yûsuf -eleyhisselam- jî fezîleteke din ji wan re şanî da û ji wan re got:

“**Îro** (bi sebeb xetayên we yên berê) **ji we re ti şermezarî nîn e! Bila Xuda we efû bike! Bi rastî ew dilovînê dilovanan e**.”[52]

Piştre ew ji bo mehcûbîyeta birayên xwe sivik bike, got:

“-Di wan deman de şeytan ketibû navbera min û birayên min.” Bi vê gotina xwe wî fezîleta xwe hê perçîntir û xurttir kir.

Ha fezîleta eslî ev e; dema însan karibe dijberê xwe ceza bike jî, lêbelê wan ceza neke û ji bo gihiştina ecra axretê karibe evdên Xuda efû bike.

Di meseleyên şexsî de hêrs bûn û întîqam standin, tetmînkarîyeke nefsanî û wesîla qeweta xwe şanî-danê ye. Ew mûmînê ku karibe vê firsend û îmkanê bidest bixe, bila efû û îhsanê bike û bila kîna xwe daqurpîne, ev bi xwe karîn, mûqteza’ya esaleteke rûhî ya mûstesna ye. Lewra ew kesê ku bi ber hêrsa întîqamê ketibe, pirr zor e ku ew karibe hefsarê îrada xwe bixe destê xwe û ji vê întîqamê biqere.

52. Yûsuf, 12/92.

Di kitêba heyatê de beşa hêrsê, tarîxa fecaetê ye. Hêrs, halê cinneteke (dînbûneke) berwext e ku têde nîmeta aqil li derveyî dewrê (bikarhatinê) dimîne. Ji bo hefsar di destê xwe xistina hêrsê, sipehîtirîn tedbîra ku mirov dikare bigre ev e; mirov bibe xwediyê fezîletên ecra wan mezin yên her wekî ef û helîmtîyê. Ew mûmînên bifezîlet, ên ku karibin vê îrade û dîrayeta bilind şanî bidin, Rebbê me van mizgînîyan dide wan:

“**Ber bi bexşîneke mezin ve bibezin ku ji cem Perwerdegarê we ye û ber bi bihiştekê ve jî bibezin ku ferehiya wê bi qasî asimanan û erdê ye ku ji mutteqiyan re hatiye amadekirin. Ehlê teqwayê, ew kes in ku malên xwe di ferehî û tengasiyê de** (di rêya Xuda de) **înfaq dikin; hêrsa xwe diqurpînin û li mirovan dibûrin. Xuda jî ji mûhsinan** (qencîkarên rast û durust) **hez dike**.” [53]

Wate mûmîn, xirabîyeke ku li dijî şexsê wî hatibe kirin di mûqabele-kirina wê ya bi exlaqê Îslamê de sê gav hene, divê ew wan taqîb bike: Ya yekê; pêşî divê ew bi hêrsa xwe karibe. Ya duduyan; divê ew efû bike. Ya dawîyê jî divê ew qencî û îhsanê bike.

## EZ WEK LANETKAR NEHATIME ŞANDIN...

Heyata Mezinê me Pêğember, ji bo karîna bi ef û qencîyê mûqabelekirina neqencîyê bi tezahurên zirweyî tije ye. Ji ber ku Ew, wek rehm ji bo temamê aleman hatibû şandin, şefqeta wî, merhemet û mehebbeta wî hemû însan dabûne ber xwe û têra wan dikir.

Ew ji ezîyet û cefa’ya mûşrikan zehf bêzar bûbû. Rojekê hinek mirovan jê xwest ku ew lanetê li wan bîne. Lêbelê wî got:

53. Alî Îmran, 3/133-134.

“*Ez, ne wek lanetkar, lêbelê wek rehm ji bo aleman hatime şandin.*” [54]

Lewra ji ber ku rûhê wî yê ezîz, xezîna şefqet û merhemeteke bêhempa bû, mezintirîn ğaya wî jî xilasîya hemû însanîyetê bûye.

Dema ew ji bo teblîğkirina Îslamê çû Taîfê, xelkê cahil û pûtperest ê Taîfê, kevir li wî barandibûn. Mezinê me bi şûn de vegerîyabû, ew di halekî tije huzm û ğem de birêve diçû, Cenabê Heq ji bo hedan anîna Hebîbê xwe bi Cebraîl re Melekê çîyan şande cemê. Melek jê re got; heke tu bixwazî ez karim van herdu çîyayên li wir bi ser serê xelkê Taîfê de bînim. Mezinê me yê ku wek rehm ji aleman re hatibû şandin jê re got:

“-*Na, ez dixwazim Cenabê Heq, hinek kesan ji nesla wan derxîne ku ew sade ji Xuda re îbadetê bikin û hîç tiştekî jê re nekin şirîk.*” [55]

Taîfîyan, heta bi 9’ê sala hicrî jî di şirkê de bi dijwarî li ber xwe dan û zayîatên giran jî bi mislimanan dane tamkirin. Paşê mislimanan hew karîn xwe bigrin, rica ji Mezinê me kirin, jê re gotin:

“-Ya Resûlellah! Tîr û rimên qebîla Seqîf em peritandin, em perîşan kirin. Êdî nifiran li wan bike!..” Lêbelê Mezinê me Pêğember ji wan re ev dûa û nîyaz kir, got:

“-*Ya Rebbî! Ji bo Qebîla Seqîf hîdayetê bike nesîb! Wan bişîne cem me!”* Piştî mideteke xelkê Taîfê hate Medîna Mûnewwer û bi Îslamê şerefmend bû.[56]

Yek ji van mezintirîn xuyahî û tezahurên fezîleta bilind a Mezinê me Resûlê Ekrem di roja fetha Mekkê de hatiye jîyandin.

54. Mûslim, Birr, 87.
55. Buxarî, Bed’ûl-Xelq, 7; Mûslim, Cîhad, 111.
56. Îbnû Hîşam, IV, 134; Tirmizî, Menaqîb, 73/3942.

Mûşrikên Mekkê bi salan ti zulmek nemabû ku li mislimanan nekiribin, her wekî ku xwîn bi mislimanan didan verîşandin û teror didan meşandin, ew roj ketibin destê mislimanan. Fermaneke ku ji devê mûbarek ê Mezinê me wê derketa ji bo bi cezayê xwe gihana ku wan tevan heq kiribû, kafî bû.

Mezinê me ji xelkê Mekkê ku di Ka'bê de hatibûn komkirin, pirs kir, ji wan re got:

"*-Gelî koma Qureyşîyan! Vêga bi gumana we, ezê çi ji we bikim?*" Qureyşîyan jê re got:

"-Em bi hêvîya ku Tu yê xêr û qencîyê bikî, dibêjin; «hûnê xêrê bikin!» Tu, birayekî xwedî kerem û qencî yî! Tu kurê birayekî xwedî kerem û qencî yî!.."

Vêca Mezinê me Pêğember ji wan re got:

"*-Ez jî wekî ku Hezretê Yûsuf ji birayên xwe re gotibû, ji we re dibêjim; «.. **Îro** (ji xetayên we yên berê) **ti gazind û şermezarî ji we re nîn e! Xuda we efû bike! Bêşiwar Ew, dilovîntirînê dilovana ye**.» Heydê herin, êdî hûn serbest in!*" [57]

Li hemberî vê ef, merhemet û fezîleta mûhteşem kîn û xusûmeta di dilê xelkê Mekkê de helîya û çû; di şûna wan de hezkirin, dostanî û semîmîyet hat. Çendîn însanê ku dilê wan bi Îslamê xweş bûbû, ji bo şerefa hîdayetê naîl bûn. Ew roj her wekî ku ev ayeta pîroz li ser xelkê Mekkê tecellî dibû:

"**Qencî û neqencî wekhev nabin. Rêya sipehîtirîn çi be, tu** (neqencîyê) **bi wê asteng bike. Ew dem tu yê bibînî ku wa ye ew kesê di navbera te û wî de dijminahî heye jî** (ji te re) **bûye her wekî dostekî nêzîk**." [58]

57. Li Îbnû Hîşam, IV, 32; Waqidî, II, 835; Îbnû Se'd, II, 142-143'an binêrin.
58. Fussîlet, 41/34.

Bi rastî însan tim û daîm li hemberî qencî û îhsanê meğlûb bûye. Qencî û îhsan ji bo îslaha însanê şerîrtirîn (xirabtirîn) jî kafî ye.

## ÇAREYA BIRINA BELAYÊ...

Qencîya li mirovên ku qencîyê dikin, xirabîya li mirovên ku xirabîyê dikin jî ne mezîyet e. Mezîyeta esilî ev e; mirov karibe qencîyê li yên ku xirabîyan dikin jî, bike. Lewra ew kesê ku qencî lê were kirin, heke dijmin be, ewê bibe dost; heke ew yekî li navê be, wê nêzîk bibe; heke ew yekî nêzîk be, semîmîyet û mehebbeta wî dê zêde bibe. Ew kesê ku li hemberî xirabîya wî qencî hatiye kirin jî, ev qencî wê ji bo wî bibe perde ku ew careke din li xirabîya xwe nezîvire.

**Hezretê Mewlana** vî exlaqê nebewî wiha îzah dike:

“*Zanibe ku rehma Xuda her zeman ji qehra wî zehftir e. Ji vî cîhetî ve her pêğember, li hemberî dijminên ku li dijî wî derketine, ğalib hatiye.*”

“*Çareya birina belayê, ne zulm-kirin e. Çareya wê; efû-kirin, lêbûrîn û qencî kirin e. Bila îqaza nebewî; «**sedeqe belayê def dikin**.» te şîyar bike. Êdî usûla dermankirina nexweşî û belayan rind fehm bike!..*”

Mezinê me Pêğember di gellek rewşên ku karîbû bi hêsanî sûckeran ceza bike de, ji bo îslaha wan û xilasîya ebedî ya wan fezîleta efûkirinê şanî daye. Lewra marîfeta eslî û mezinatîya rastîn ev e; dema mirov hêz û firsenda întîqamê hebe, karibe hefsarê nefsa xwe bixe destê xwe û ef û îhsanê bike.

Çawa Pêğemberê Xuda di hedîsa şerîf de dibêje:

"*Egîd, ne ew kes e ku di gemşê de rikeberê xwe dibezîne. Egîdê esil, ew kes e ku dema diqehere, kare hêrsa xwe bibezîne.*" [59]

Di bara vê fezîletê de di ayeta pîroz de jî ev mizgînî hatiye dayîn:

"**Cizayê neqenciyekê neqenciyeke 'aynî mîna wê ye. Lêbelê kî, 'efûkirinê esas bigre, aştiyê saz bike hemin xelata wî li ser Xuda ye. Bêguman ew, ji zaliman hez nake**." [60]

Elametê farîqe yê Mezinê me Resûlê Ekrem ev bûye ku ji efûkirina xeta û qusûran biwêdetir, wî karîbû ji bo tesîskirina silh, aramî, dostanî û biratîyê bi xirabîyê re jî baş mûamele bike. Em jî wek ummeta wî divê ev xeslet di me de jî hebin. Di cejnan tenê de efûkirina qusûran û haştbûn li mûmînên kamil nayê. Ev efû û haştbûn, ji bo xwe kirina bi tebîetê eslî, elametê kemala di îmanê de ye.

Ev hedîsên Mezinê me Pêğember, di vê xusûsê de asoya bilinda wî şanî dide. Ev hedîs ji bo mislimanan endazeke bêhemtaya exlaqî teqdîm dikin:

"*Bila hîç ti kes ji we nebe ji wan bê şexsîyetên ku dibêjin; «ez bi însanan re me, heke însan qencîyê bikin ez jî qencîyê dikim, heke ew xirab hereket bikin, ez jî xirab hereket dikim!» Berevajî vê, heke însan qencîyê bikin, qencî kirin e,* heke ew xirab hereket bikin, nefsa xwe terbîye bikin ji bo hûn neheqîyê nekin.." [61]

"*Ewê ku têkilîya xwe ji te qut bike, tu têkilîya xwe jê qut neke! Ewê ku nade te, tu bide wî! Wî yê ku xirabîyê li te dike, efû bike!*" [62]

59. Buxarî, Edeb, 76.
60. Şûra, 42/40.
61. Tirmizî, Birr, 63.
62. Ehmed bin Henbel, Mûsned, IV, 148, 158.

*“Tu li kuderê dibî bibe her xwe ji Xuda vede. Li hemberî xirabîyê qencîyê bike da ku tu koka xirabîyê qut bikî. Bi însanan re jî bi exlaqê xweş mûamele bike!.”* [63]

“*Min koçkên ku li bexçên Cennetê dimeyzandin, dîtin û min ji Cebraîl pirs kir, jê re got:*

"-*Ev ji bo kê ne?"* Wî jî got:

"-*Ev ji bo wan kesan e ku her cure kîn, nefret û hêrsê daqurpînin û qusûrên însanan xweş bibînin û efû bikin*." [64]

## EFÛ JÎ DIVÊ DI CIHÊ XWE DE...

Bila em jî di bîra xwe bînin ku li pêşberî her cure qusûr û kêmasîyan meyla efûyê, divê fezîlet neyê zenkirin. Efû-kirin û lêbûrîn, di sûcên ku li hemberî wî şexsê wan efû dike de mewzûbehs e. Lêbelê sûcên wisan hene ku ew li hemberî mûqeddestên dînî û millî di mahiyeta êrîşê de ne, ew li hemberî maf û hiqûqên civakê di mahiyeta êrîşê de ne.. Di rewşên wiha de îcab dike mirov wan efû neke; lêbelê divê mirov ji bo îslahê wan ceza bike, edaletê bicih bike û bi eşkerehî îlan bike ka çi rast e, çi jî xwehr e.. Lewra dema sûckerên wiha werin efûkirin, evê rê li ber neheqîyên mezintir veke, ji lewma bêşiwar wê zulm li civakê bibe.

Çawa dêya me Hezreta Aîşe helwesta Mezinê me Pêğember di vê xusûsê de wiha îfade kiriye:

“*... Resûlûllah ji ti kesê ku xirabî lê kiribe, întîqam nestandiye (yanî ew ceza nekiriye). Lêbelê dema ew tiştên ku Xuda heram kiri-*

---

63. Î. Canan, Kutub-î Sitte, c. 5, rûp. 304.
64. Elî el-Mûtteqî, jimar: 7016; Ewarif, rûp. 253.

*bûn dihatin binpêkirin, wî li ser navê Xuda ji wî yê ku ew heram binpê kiribû întîqam distand (ew ceza dikir).*” [65]

Hêrsa ne cihê xwe de, çawa ew bi xwe re fitne û fesadîyê tîne, aynî wisan ew cihê ku divê însan têde hêrs bibe jî hers nebûn, zaîftîyeke exlaqî ye ku heman encamê diwelidîne. Dema lazim be ji bo Xuda buğz-kirin jî mûqteza'ya (lazimiya) îmanê ye. Mesela di esnaya cengekê de li hemberî dijmin dijwar bûn, îfadeyeke esîla heyecana îmanê û ğeleyana rûhî ye, ew elametê dîndarî û welatperwerîyê ye. Li hemberî sûcên ku li dijî mafên civakê û li dijî nirxên manewî û neteweyî tên kirin jî aynî dijwarî şanîdan jî, şanîderîyeke esaleta îmanê ye.

Jîyana Mezinê me Resûlê Ekrem, ha bi xuyahîyên zirweyî yên endazên fezîleta bilinda wiha tije ye. Wî, mirovên ku li dijî şexsê wî xirabî kirine efû nekirine û hew, lêbelê wî di sewîyekeke mûkemmeltirîn de fezîleta qencî-kirina li wan jî şanî daye, bi vî awayî ew ji bo ummeta xwe bûye nimûne.

## MA HÛN NAXWAZIN XUDA JÎ WE EFÛ BIKE?

**Hezretê Ebûbekr** jî ku xwe di Resûlê Xuda de fanî kiriye, wî jî nimûneyên wisan baş ên mûamele-kirina bi ef û qencîyê li hemberî xirabîyê raxistine ber çavan ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzekla wî.

Hezretê Ebûbekr tim û daîm arîkarîya feqîrê bi navê Mistah (kurxaltîyê Ebûbekr e) dikir. Di Hadîsa Îfkê de ku li dijî keça wî Hezreta Aîşe hatibû kirin, dema Hezretê Ebûbekr ew jî di navbera îftîraçîyan de dît, sûnd xwar ku ew careke din qencîyê lê nake û ew arîkarîya wî û malbata wî nake. Dema arîkarîya Hezretê Ebûbekr

65. Mûslim, Fedaîl, 79; Ebûdawud, Edeb, 4.

ji ser Mistah û malbata wî hate birrîn, êdî ew digel malbata xwe perîşan ket. Ji lewma di bara wan de ev ayetên pîroz nazil bûn:

"**Bila ji nav we, ewên ku bêhnpak û xwedî-serwet in sûnd nexwin ku êdî ewê arîkarîyê nedin xizman, belengazan û yên ku di rêya Xuda de mûhacir bûne; bila li wan bibûrin û li qisûra wan nenêrin. Ma hûn hez nakin ku Xuda jî li gunehên we bibûre? Hemin Xuda gunehbexş û dilovîn e**." [66]

"**Ji ber sûndên xwe yên ku we bi** (navê) **Xuda xwarine, nekin asteng ji bo hûn qenciyê nekin, yan nebin ji ehlê teqwayê, yan jî lihevanîna xelkê! Xuda bîser û zana ye**." [67]

Di piştî nizûla van ayetan de Ebûbekr got:

"-Helbet ez dixwazim Xuda min efû bike!" Paşê wî kefaretê sûnda xwe da û li ser kirina xêr û arîkarîya xwe dîsa destpê kir û her berdewam kir. [68]

Lewra efûkirin û her efûkirin heta bi layiqbûna ji bo efûya Xuda, ji bo mûmînên kamil ufuqeke jênegera îmanê ye.

## LI HEMBERÎ XIRABÎYÊ ÇI QEDER QENCÎ?..

Rojekê eshabê kîram ji Mezinê me Resûlê Ekrem pirs kirin; çima Hûn zehf ji Hezretê Elî hez dikin? Mezinê me Serwerê Alemê ferman kir, ji wan re got; Hezretê Elî bang bikin. Yek ji sehabîyan çû ji bo gazî Hezretê Elî bike. Mezinê me Hebîbê Ekrem berî Hezretê Elî were, ji eshaban pirs kir:

"*-Ey eshabê min! Heke hûn qencîyê li yekî bikin û ew jî xirabîyê li we bike, hûnê çi bikin?*"

66. Nûr, 24/22.
67. Beqere, 2/224.
68. Buxarî, Meğazî, 34; Mûslim, Tewbe, 56; Teberî, Tefsîr, II, 546.

Eshabê kîram jê re gotin; emê bi qencîyê mûqabele bikin.

Mezinê me Resûlê Ekrem dîsa ji wan re got:

"*-Heke ew kes careke din xirabîyê bike, hûnê çi bikin?*"

Eshaban dîsa got; emê qencîyê li wî bikin.

Dema Mezinê me Pêğember got:

"-Heke dubare ew xirabîyê li we bike, hûnê çi bikin?" Eshabê kîram serê xwe di ber xwe de berdan, ji xwe re ti cewabek nedîtin.

Paşê Hezretê Elî hat. Mezinê me Resûlê Ekrem jê re got:

"*-Ya Elî! Heke tu qencîyê li yekî bikî, ew jî xirabîyê li te bike, tu yê çi bikî?*"

Hezretê Elî got; ezê bi qencîyê mûqabele bikim.

Digel ku Mezinê me aynî pirsa xwe heft caran dubare kir jî Hezretê Elî di bersiva tevan de jî her digot:

"*-Dîsa ezê qencîyê bikim.*" û wî bi vî awayî bersiv da. Paşê ev jî lê îlawe kir, got:

"*-Heta ez qencîyê li wî kesî bikim û ew jî li hemberî min bi xirabîyê mûqabele bike, ezê dîsa qencîyê lê bikim.*"

Çawa Hezretê Elî wiha gotiye:

"*Neqenctirînê însanan ew kes e ku qencîyê bi neqencîyê pêşwazî bike û qenctirînê însanan ew kes e ku li hemberî neqencîyê qencîyê dike.*"

"*Qencîyê bikin û hîç neyênin aqilê xwe ku hûnê li hemberî qencîya xwe neqencîyê bibînin.*"

## ÎNSAN JI ÎHSANÊ RE MEĞLÛB E...

Li gorî hatiye guhastin, yekî ji **kurê nevîyê Hezretê Elî** re da çêran. Cileke bisîm li ser pişta wî bû, wî ew ji xwe kir û da wî zilamî û ferman kir ku hezar dirhemên din jî jê re werin dayîn. Tê gotin; wî bi vê hereketa xwe pênc fezîlet bi carekê raxistine:

Ya yekê, helîmtî ye; lewra ew hêrs nebû.

Ya duduyan, wî ezîyet ji holê rakir.

Ya sisêyan, wî ew zilam ji dûrketina ji Xuda xilas kir.

Ya çaran, wî kir ku zilam poşman bû û tobe kir.

Ya pêncan jî wî kir ku wî zilamê jê re çêr dikirin vêca destpê kir û medhê wî kir.

Dîsa zilamekî çêr ji **Hezretê Îbnû Ebbas** re kirin. Îbnû Ebbas dengê xwe dernexist. Piştre dema ew li Îkreme fetilî ku li cemê rûniştîbû û jê re got:

"-Heke îhtiyaceke vî zilamî hebe, em li çareya wê binêrin?" Zilamî ji ber şermîya xwe serê xwe di ber xwe de bi erdê ve tewand.

## ÇAVÊN KU KARÎNE JI BO XESMÊ XWE BIGRÎN...

Ev halê Hezretê **Fudeyl bin Iyaz** ê ku yek ji dostên Xuda bûye, ji bo qiwama dilî ya mûmînên kamil nimûneyeke sipehî ye:

Dema dîtin ku wa ye ew digrî û jê pirs kirin, çima tu digrî? Wî ji wan re got:

"-*Ji bo mislimanekî reben ê ku zulm li min kiriye ğemgîn im, ji lewma ez digrîm! Kedera min hemû, ji bo vê ye ku ewê di qiyametê de rezîl bibe*."

Dîsa dema ji **Hezretê Fudeyl bin Iyaz** re hate gotin:

“-Filan keso zimanê xwe li ser heysîyeta we dirêj dike.” Wî di hemberî vê gotina wan de ev got:

“-Wellahî ez ji wî hêrs nabim, ez ji Îblîsê ku wan peyvan pê dide gotin, hêrs dibim.” û wî ev nîyaz kir, got:

“-Xudayê min, heke ew kes rast dibêje min efû bike, na heke ew derewan dike, wî efû bike.”

Çawa **Hezretê Hesenê Besrî** jî ji yekî ku ğeybeta wî dikir hêrs nebû, hedîye jê re şandin û jê re teşekkur kir. Lewra wî baş dizanîbû ku ewê ğeybeta kesekî dike ya sewabên xwe ji wî re dewr dike, yan jî gunehên wî li xwe bar dike.

Dema kevir-baran li **Hellacê Mensûr** ê ku di dilên arif û aşiqan de wî cihekî mûstesna heye jî dihate kirin, wî digot:

“Ya Rebbî! Berî min, yên ku keviran li min dibarînin efû bike!” Wî bi vî awayî îsareke mezina dilî şanî daye.

Dema rojekê Hezretê **Reb‘î bin Heysem** nimêj dikir, li pêş çavên wî hespê wî hate dizîn ku qîmetê wî bîst hezar dirhem hebûn. Lêbelê ew bi pey diz neket û li ser nimêja xwe bi hizûr berdewam kir.

Dostên wî yên ku ev jidestdana mezina wî bihîstin bazdan, hatin ji bo wî tesellî bikin. Hezret, ji dostên xwe re got:

“*-Dema wî zilamî hespê min vedikir min ew dît. Lêbelê ez di wê gavê de bi karekî mûhîm û yê min zehf jê hez dikir ve meşğûl bûm. Ji lewma ez bi dûv diz neketim*.”

Vêca dostên wî destpê kirin û nifir li dizî kirin. Hezret ew dane huşkirin û ji wan re got:

"-*Bêhna xwe fereh bikin, ti kesî zulm li min nekiriye! Wî zilamî zulm li xwe bi xwe kiriye. Wekî ku zulma wî rebenî li xwe kiriye ne bes be, êdî bila em jî zulmê li wî nekin*!" [69]

## HERKES PERTALÊN XWE DIFIROŞE...

**Hezretê Îsa** ji bo teblîğê çûbû cem hinek cihûyan. Cihûyan destpê kir xeberên xirab jê re serf kirin. Wî jî li hemberî van bi başîyê û bi uslûbekî şîrîn peyivî. Ewên ku jê re digotin:

"-Ew xirabîyê ji te re dibêjin lêbelê tu hê jî başîyê dibêjî?" Wî bersiv wiha da û ji wan re got:

"-*Her kes pertalên xwe difiroşe*."

Yanî hemû bizav, hal û hereketên însanî ayneya alema navxweyî ya wî ne. Çawa xeta rast ji cedwelê xwehr dernakeve, aynî wisan hêvîkirina bizaveke sipehî ji bedbextekî alema dilî ya wî neberraq beyhûde ye. Ewê ku nîyetên wan tarî bin, rêyên wan ronahî nabin. Her cêr çi têde hebe, wê direşîne.

Li ser vî esasî li hemberî xirabîyê bi xirabîyê mûqabele-kirin, şeklê bizava însanên xam e. Di her hal û karî de kirina qencîyê, sewîya ulwî ya ku alema nexweyî ya şexsî pê gihayî, şanî dide.

Qencî-kirina li însanan jî wê sê dereceyên fezîletê hene:

Ya yekê, **qencî-kirina li hemberî qencî** ye. Bi kêmasî teşekkurkirina ji bo qencîyeke ku hatibe kirin tebîîtirîn wezîfa însanî ye. Ya ji vê baştir jî; bi qencîyeke mezintir mûqabele-kirina qencîyê ye.

Ya duduyan, **bê hêvîkirina ti hemberîyekê qencî-kirin** e. Ewên ku wiha tevdigerin ji kesên di pêpelinga yekê de çêtir in.

69. Li Babanzade Ehmed Naîm, Îslam Exlaqî'nin Esaslari, rûp. 85-86'an binêrin.

Ya sisêyan û ya bi qîmettir jî ev e; **qencî-kirina li wî kesê ku neqencî** kiriye. Lewra fezîleta her xêrê, bi qasî zorbûna wê ye. Qencî xwestina ji mirovê ku ew bi xwe ji xirabîyê re rûbirû mabe heta tu bibêjî bes zor e. Ji bo vê hatiye gotin; "**qencî-kirina li hemberî qencîyê karê her kesî ye; lêbelê qencî-kirina li hemberî xirabîyê jî karê camêra ye.**"

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

"*Bi sedan kerem û îhtîşamên avê hene ku ew lewitîyan qebûl dike û qirêja wan paqij dike*."

Mûmînekî kamil jî divê wekî avê ezîz û wekî deryayê dilfereh be, ew çi qeder li hadîseyên naxweş rast were jî bila karektêrekî kamil ê ku rehmê tewzî (bicih) dike, şanî bide. Bila ew xwedî dilekî wisan berraq be ku nezaket, zarafet û sipehîtahîyan dide xuyakirin.

Dîsa **Hezretê Mewlana** dibêje; "wekî axê bibe!" Ax, ji bo hemû zindîyên ku wê di bin lingê xwe de diperçiqînin bi comerdî îkraman ji wan re teqdîm dike. Dîsa ax, curûfata mexlûqatan temîz dike, piştre dubare wê ji bo hemû zindîyan xurekên temîz, lezîz û şîfadar îkram dike.

Cenabê Heq, ji bo em nesîbê xwe ji hikmetên wî wergirin, bi av û axê çi mîsaleke sipehî raxistiye. Ji bo însanî jî ku eslê wî ax û av e, bila di hikmeta van heyberan de kûr bibe, ji bo karibe xesletên wan qezenc bike, divê wî ufûqeke dil-bilind hebe.

**Rebbê me vê qiwama dilî ji bo me tevan bike nesîb. Ji bo me tevan mûyesser bike ku em bibin ji mûmînên salih ên ku efû dikin û efû dikin heta ji bo efûya îlahî dibin layiq û însanîyet tim û daîm qencî, sipehîtahî û xêran ji wan dibîne! Me bike ji wan kesên ku para xwe ji halên sipehî yên ewlîyaûllah werdigrin û şîrînîya nêzîkbûna ji Heq ji bo dilê me bike xezîneyeke ku hîç xilas nabe!**

**Amîn!..**



# Tebessum/Bevkenî

*Ğaya dîn; gihandina însanên zarîf, sipehî û hessas e. Mûmînên kamil, bi rûkenîya xwe silavê li hemû heyberan dikin. Alema dilî ya wan, wekî pencerekekê ji hemû mexlûqan re hatiye vekirin. Lewra mûmînên kamil, di hikmeta çîçekên ku bel dibin, çûkên ku dixwînin û darên bifêkî de kûr dibin, ew her wekî çîçekan rûh-tenik û nazik; her wekî darên bifêkî jî comerd û xwedî îkram dibin.*

# TEBESSUM/BEVKENÎ

Jîyana dinyayê geh keyfxweşî ye, geh ğemgînî ye, di nav hezar û yek med-cezîran dewam dike û diçe. Dil, dişibihe mêhvanxaneyekê. Her yek ji êş û elemên ku diçinê û keyfxweşî û dilşadî jî di hukmê mêhvanî de ne. Hîç yek ji wan daîmî û manyende nabe. Ji lewma îcab dike ku mûmîn, li hemberî hadîse û bûneweran bi ber bayê keyfxweşîya zêde nekeve û bi ber bayê ğemgînîya zêde jî nekeve, hizûr û îstîdala (hevkêşîya) heyata fanî ya xwe di cihê ne pêwîst de xirab neke.

Heyata **Mezinê** me **Resûlûllah** ku ew wek şexsîyeteke nimûneyî ya mûkemmel ji însanîyetê re hatiye hedîye-kirin, menzûma êş û îzdîraba ye. Çawa ew bi xwe vî halê xwe îfade dike û dibêje: "*...Ez di rêya Xuda de ji ezîyetên wisan re rûbûrû mam ku hîç ti kesî ew nedîtine…*" [70]

Lêbelê hîç êşeke ku wî kişandî jî metanet û mûwazena Resûlê Xuda xirab nekir. Wî ev çîle û êş hemû jî bi kemaleke mezin û halê rizayê pêşwazî kir. Digel ku dilê wî bi gellek êş û azaran hatibû dağdan jî, lêbelê tebessum hîç ji rûyê wî yê gulî kêm nebû. Hîç ti kesî di ti wextî de ew birtûyekî tirşkirî, bi birheke mirûzkirî û bi çehreyeke abûs nedît. Lewra ew, di nav hizûr û neşwa bi Heq Teala re bûnê de daîmî di halê bevkenî û tebessumê de bû, di her hal û karî de wî rûkenîya Îslamê dida xuyakirin.

70. Tirmizî, Qîyamet, 34/2472.

Eshabê kîram û ewlîyaûllah jî ku xwe di Resûlûllah de fanî û tine kirine sipehîtahîyên dinyaya navxweyî ya xwe di sîmayên xwe de dane xuyakirin û tim û daîm di halê bevkenî û tebessumê de bûne.

Çawa **Ummû'd-Derda** wiha vedibêje:

Dema **Ebû'd-Derda** peyvek digot, wî mûheqqeq tebessum dikir. Min rojekê jê re got:

"-Ez bi fikar im ku însan vê rewşa te ğerîb pêşwazî bikin û wê eybdar bikin!" Wî jî ji min re got:

"-Dema Resûlê Xuda peyvek digot mûheqqeq wî tebessum dikir." [71]

Hewldanên Mezinê me Resûlûllah di rêya Xuda de, tebessumên daîmî yên ku wekî gulê di rûyê mûbarek ê wî de vedibûn, sipehîtirîn mîsala pêrebûna hizûrbexşa wî bi Ellah Teala re bûye.

Her însan ta'mê ji keyfxweşbûnê dibîne. Lêbelê wekî her tiştî endazeke keyfxweşbûnê û heddê layiq ê wê heye. Bi sebeb mûsîbetên ku tên serê mirovî, wekî ku mirov xwe mehû bike wisan di êş û eleman de ğerq bûn çawa xeta be, li hemberî hadîse û bûnewerên ku keyfxweşî û dilşadîyan didin jî wekî ku mirov xwe winda bike aynî wisan serxweveçûnên wekî qehqehe avêtinê jî rewş û halên wisan e ku heysîyet û şexsîyeta însanîyetê diperçiqînin..

Naxwe divê mûmîn xwedî dilekî daîm reqîq, tenik û hessas be, divê ew ji sîmayê xwe jî tebessumeke şîrîn kêm neke. Lewra tebessum, li hemberî sivikatîya kenê serxweveçûnê weqara mûmînî, li alîyê din jî li hemberî êşdarîya rûtirşîyê jî cazîbeya mûmînî ye.

71. Ehmed, V, 198, 199.

Bizaveke wekî ken ku jirêzê tê dîtin jî karektêra însanî dide destan û xuyakirin, **Hezretê Mewlana** jî ji vê mentiqê hereket dike û îqazeke zirav dike, dibêje:

“*Ez ji çawa kenîna însanî edeba wî, ji bi çi kenîna wî jî aqilê wî fehm dikim.*”

Keyfxweşbûneke ji heddê xwe zêdetir û bi qasî şaşomaşo-bûnê kenîn, di gellek deman de însanî dixe ğefletê û vê heqîqeta ku ew li vê alemê bi îmtîhanê ve bend e, pê dide jibîrkirin. Jibîrkirina heqîqeta ku esil seadeta ebedî li axretê ye jî bi esîrbûna dil ji çêjên fanî re bi encam dibe. Heke ev mûdeteke dûv-dirêj dewam bike, şeq-şaq û qehqehe jehrê dipijiqînin rûh, ew dikin ku qelb cilê qeswetê li xwe dike, wî hişkûhola dike û dike ku ew hessasîyetên xwe berze (winda) dike.

**Hezretê Ûmer** di xusûsa ku kenîna zêde û bi awayê serxweveçûyî, dikare mirovan manen ber bi xeteran ve bikişkişîne de, van şîyarîyan dide, dibêje:

“*Ewê ku kenîna wî zehf bibe, heybeta wî kêm dibe. Ewê ku zehf tinazan bike, tinaz lê têne kirin. Ewê ku tiştekî zehf bike, ew bi wî tiştî tê naskirin. Ewê ku zehf biaxive, zehf şaşîyan dike. Ewê ku zehf şaşîyan dike, heya wî kêm dibe. Ewê ku heya wî kêm dibe, xwe ji tiştên bişubhe kêm diparêze. Ewê ku xwe ji tiştên bişubhe kêm diparêze jî dilê wî dimre!*” [72]

Ew ğefleta ku giringtirîn nexweşîya manewî ye, ew rewşa dilşadbûna di nava însanî de wekî ku ewê mayende be jê re şanî dide, bi vî awayî wî dixapîne. Vêca ew mirina li pêşîya xwe û menzîl û qunağên zor ên wekî vejîn, hesab û sîratê jibîr dike û dike ku ew ji meseleyên esilî ğafil dimîne. Di Qur’ana Pîroz de ev wesfê umûmî yê însanan wiha hatiye îfadekirin:

72. Îhya, III, 288.

“**Hûn dikenin û nagrîn! Û hûn di nav ğefletê de têne xapandin**.” [73]

Mezinê me Pêğember jî di vê meyanê de dibêje:

“*Heke tiştê ku ez dizanim we zanîbûna, hûnê hindik kenîbûna û zehf girîbûna*.” [74]

**Hezretê Mewlana**, di mahîyeta îzahata van heqîqetan de vê şîretê dike, dibêje:

“*Mirovên aqilmend pêşî digrîn; ew di dawîyê de di tebessuman de ğerq dibin. Herçî ehmeq in, pêşî di qehqehan de ğerq dibin, piştre serê xwe li keviran dixin û digrîn.*

*Ey însan! Fîrasetmend bibe, dawîya kar, dema ew hê di destpêkê de ye, bibîne û di roja cezayê de bi agirê poşmanîyê pênekeve û neşewite!..*”

**Hezretê Îmamê Ğezalî** jî qisseyeke wiha diguhêze, dibêje:

Zilamekî ji birayê xwe yê ku bi serxweveçûyî dikenî pirs kir, jê re got:

“*-Te xêr e! Ma xeberek gihaye te ku tu dê ji Cehennemê xilas bibî*?” Dema wî ji birayê xwe bersiva “*-Na*.” wergirt, vêca jê re got:

“*-Naxwe tu çawa dikarî wiha bikenî!*” [75]

Lewra ji bilî pêğemberan ji ti bendeyekî re temînata çûna cennetê nîn e.

Dema **Wehb bin Werd** -rehmetûllahî eleyh- roja cejnê xelk didît ku wa ye ew zehf dikenin, ev nesîhet li wan kir, ji wan re got:

73. Necm, 53/60-61.
74. Buxarî, Tefsîr, 5/12.
75. Îhya, III, 288.

"*Heke gunehên we hatibin efûkirin ev hal, ne halê şukrkera ye. Heke gunehên we nehatibin efûkirin ev, ne halê mirovên ku ji (ezabê îlahî) ditirsine!*" [76]

**Mûhemmed bin Wasî'-**rehmetûllahî eleyh- jî dibêje:

"*Girîyê mirovê ku di cennetê de radiweste çi qeder ğerîb be, kenîna zêde ya mirovekî hê li dinyayê cihê ku ewê biçiyê (wê cennet be, yan jî cehennem be) nizane, ew qeder ğerîb e.*" [77]

Ev hal, di bara wê şexsîyeta ku exlaqê Îslamê bi mûmînî daye qezenckirin de endazeke giring di nav xwe de dihewîne. Naxwe divê mûmîn, digel ku ew di alema navxweyî ya xwe de bi volkanên fikarên ebedî û mûezzam dikele jî dîsa dikare di rûyê xwe de wekî lîmaneke (bendereke) aram û sakin sikûnet û rehetîyê tewzî (belav) bike. Divê ew xwe bi ber bayê keyfxweşîya zêde ve bernede û sist nebe, divê ew bi ber bayê ğemgînîya zêde jî nekeve û bedbîn (reşbûn û xirab-bîn) nebe.

Divê mûmîn, di navbera "**xewf û reca**"-yê de qiwameke qelbî pêkbîne. **Xewf**; wate bila ew bi amelên ku kirine serxweve neçe, ji ezabê Cenabê Heq her bitirse û daîmî xwe bavêje ber penaha wî; **reca** jî, wate bila ew daîmî ji rehma Xuda umîdwar bibe û bi vê hêvîyê nekeve bedbînîyê.

**Xalidê Beğdadî** -quddîse sirûh- di nameyeke ku ji telebeyên xwe re nivîsandî de wiha dibêje:

*"Ez bi Xuda sûnd dixwim ku ji roja ez ji dêya xwe bûme û heta bi îro, ez bawer nakim min xêreke tenê kiribe ku ew li cem Xuda meqbûl û mûteber be û hesabê wê neyê pirsîn... (Ez bes rehma Rebbê xwe hêvî dikim.)*

76. Îhya, III, 288.
77. Îhya, III, 289.

*...Vî evdê feqîr ji dûaya mûweffeqîyet û husna xatîme jibîr nekin...”*

Ha ew tebessuma ku tebîetê eslî yê mûmînî ye, bi nêrînekê ew vê qiwama îtîdalê îfade dike. Lêbelê çi qeder tebessum bizaveke sipehî be jî, afeteke wê heye ku ew jî bi nîyeteke şaş kirina wê ye. Ev tebessumên ku bi nîyetên xirab ên wekî ğurûr/quretî, kibr, îstihza, biçûk-dîtina bira-dînê xwe, tinaz-kirina li mûmînan têne kirin, ew bi zehfî bê giringî-pêdan têne kirin, di eslê xwe de li axretê wan dê webalekî zehf dijwar hebe.

Çawa **Îbnû Ebbas** di tefsîra vê ayetê de gotiye:

“**Dibêjin: «Wey li halê we be**!» «**Ev çi kitêb bûye! Çi biçûk be, çi mezin be, tiştek nehiştiye** (we çi kiribe ew) **tev hijmartine û rêhtine!**»[78] di bara “**seğîre/gunehê biçûk**” de ew tebessum e ku dema bi îstihza tinaz li mûmînî tê kirin de, hatiye kirin. Di bara; “**kebîre/gunehê mezin**” de jî ew qehqehe ne ku di vê navê de têne avêtin.” [79]

## TEBESSUMA MÛMÎNÎ DI RÛYÊ WÎ DE YE, HUZNA WÎ JÎ DI QELBÊ WÎ DE YE...

Li gorî van hemû heqîqetan, mûmîn di qiwama dilî ya xwe de jî îhtiyaca wî bi miqdarekî diyar ê huzn û endîşê heye. Digel vê jî dema ew dil mehzûn meğmûm be jî îcab dike ku ew rûyê xwe bi bevkenî û tebessumeke şîrîn rohnî bike.

Çawa **Hezretê Elî** dibêje:

“*Tebessuma mûmînî di rûyê wî de ye, huzna wî jî di qelbê wî de ye.*”

78. Kehf, 18/49.
79. Îhya, III, 294.

Mûmînên kamil, bi sebeb ketina xeta û nuqsanîyên di evdînîya xwe de ğemgînî û hêstirên çavên xwe di tenha û tenê-mayînên xwe de nexasim di seheran de dibarînin. Ev halên mûhaseba enfûsî yên wan û tefekkur-kirina wan di qusûrên xwe de, şûştina ayneyên dilên xwe bi hêstirên çavên xwe, di aynî zemanî de jêdera wê nûrê ye ku di rûyên wan de dixuyê.

**Hezretê Mewlana**, hikmeta wê nûra di rûyê dostên Heq de çi xweş îzah dike, dibêje:

“*Ez rûyê xwe nabînim lê rûyê te dibînim. Tu jî rûyê xwe nabînî lê rûyê min dibînî. Nûra kesê ku karibe rûyê xwe bibîne, ji nûra xelkê zehftir dibe*.”

Wate, sebebekî nûra di rûyê însanî de jî ji vê tê ku; însan karibe bi diqqet li halê xwe binêre û ew berî qusûrên dîgeran bibîne jî, karibe qusûrên xwe bibîne. Serkehnîya nûra di rûyê wan arifan de ku gihane hikmeta vê hevokê: *“Ewê ku nefsa xwe nas bike, Rebbê xwe jî nas dike.”* jî ev e. Ji lewma hatiye gotin: *“Ti îrfaneke wekî ku însan nuqsanîyên xwe zanibe, nabe!”*

Hezretê **Ebdûlqadirê Geylanî** dibêje:

“*Mûmîn bi rûyê xwe ji însanan re şanî dide ku ew keyfxweş e. Lêbelê ew bi xwe ğemgîn e... Tefekkura mûmînî, hizirîna wî, girîna wî zehf e; kenîna wî kêm e. Ew bi tebessuma xwe ğemgînîya di dilê xwe de vedişêre. Xuya dibe ku ew li derve bi temînkirina debara xwe ve mijûl dibe, haleve ku qelbê wî bi bîranîna Rebbê wî re meşğûl e. Dixuyê ku ew bi zar û zêçên xwe re mijûl dibe, lêbelê qelbê wî bi Rebbê wî re ye.*

*Dev ji hirsê, serxweveçûnê, harbûnê û hezkirina dinyayê berde! Keyfxweşî û şahîya xwe biçekê kêm bike! Biçekê bi huzn bibe! Zanibe ku Mezinê me Pêğember tebessum dikir ji bo dilê dîgeran keyfxweş bike...*”

Bi serxweveçûnî kenîna însanî, rewşa îfratê ye. Rûyê xwe tirşkirin û mirûzê xwe xwehr-kirin jî rewşa tefrîtê ye. Herdu rewş jî ji bo dilên mûmîn yek ji afetên manewî ne. Îtîdala van û meqbûltirîn qiwama wan jî tebessum e.

## HALÊ TEBESSUMA MEZINÊ ME PÊĞEMBER

Tebessum ew kenîn e ku zêde deng dernekeve, bes qismek ji diranan tên dîtin. Mezinê me Resûlê Ekrem jî wiha dikenîya. Di kenîna wî de zêdegavîyeke wekî qehqehan çênedibû.

Çawa dêya me **Hezreta Aîşe** jî wiha dibêje:

"*Min hîç Hezretê Pêğember nedîtiye, ew bi awayê ku zimanê biçûk ê wî were dîtin, bi qehqeha kenîbe. Wî bes tebessum dikir.*" [80]

Li gorî rîwayeta gellek sehabîyan, Mezinê me Pêğember ji hemû mirovan xuy sipehîtir bû û wî ji her kesî naziktir bizav dikir. Ew her dem devliken û mûtebessim bûye. Di rûyê wî de nûr û ronahîyek hebû, wê tim diberiqand.

**Ebdûllah îbnû Selam** ku yek ji alimên cihûyan bûye, di dema hicretê de bi meraq pirsa Resûlê Xuda kiribû. Dema wî li wechê mûbarek ê wî meyzandibû, gotibû:

"Ev rû derew nake!" û misliman bûbû. [81]

Rû-çavê însanî, ser û pêyê wî cure vîtrîna wî ye. Ji bilî zimanê hemû heyberan ê ku tê zanîn, wan zimanekî hal jî heye. Wate însan, çendan bi devê xwe nepeyive jî bi sekna xwe di rewşa daxuyandinê de ye. Di rûyê însanî de nîşanek ji halê dilê wî heye. Ji bo çavên bîner, hemû çehre, tercumanê alemên navxweyî ne. Ji vê cîhetê ve

80. Buxarî, Edeb, 68; Mûslim, Îstisqa, 16.
81. Tirmizî, Qiyamet, 42/2485; Îbnû Mace, Et'îme, 1, Îqamet 174.

rewşa tebessumeke nûranî ya di sîmayan de sipehîtirîn xuyahîya alema dilî ye ku xwe li derve dide nîşandan.

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

“*Heke tu yê hinarê wergirî, hinara ku dikene, ya qeliştî wergire ku ew ken, ji libên nava hinarê xeberê bide te. Kenê arifî, çi kenekî mûbarek e ku ew ken, wekî durra di qotîya can de, ji dev, ya di dil de şanî dide.*

*Hinara ku dikene, kenê bağ û dehlê jî tîne. Sohbeta (hevaltîya) arifan, te jî dixe nav arifan. Heke tu kevirekî hişk û hola bî, yan jî perçeyek mermer jî bî, heke tu karibî bigihîjî xwediyekî dil tu yê bibî cewher.*”

Mezinê me Resûlê Xuda jî bi çehreya nûranî ya xwe ku alem rohnî dikir di ber însanan de hêdîka, tebessum dikir û wilo dibûrî. Wî ji bo xweşkirina dilê eshaba bi diqqet li peyvên wan guhdarî dikir. Ew bi awayê ku ew diranê wî yê wekî duran bibînin, dikenî. Eshabê kîram jî îqtîda pê dikirin, di sohbetên xwe de bes bi tebessumê îktîfa dikirin.

**Cerîr bin Ebdûllah** wiha vedibêje:

“Mezinê me Fexrê Kaînatê, ji roja ez misliman bûm û pê ve ez ji çûna hizûra xwe men nedikirim û wî kengê ez didîtim her tebessum dikir.” [82]

**Ebdûllah bin Haris** jî gotiye:

“Min ti kesekî ku ji Resûlê Xuda zehftir tebessum bike, nedîtiye.” [83]

Pêğemberê Xuda di hedîsên şerîf ên xwe de dibêje:

---

82. Buxarî, Edeb, 68.
83. Tirmizî, Menaqîb, 10.

“*Ti qencîyekê biçûk nebîne çendan ew ji vê îbaret be ku tu bi devlikenî pêşwazîya bira-dînê xwe jî bikî.*” [84]

“*Her qencîyek sedeqeyek e. Bi rûyê devliken pêşwazîkirina te ji bo birayê te û ji firağa xwe av valakirina te di firağa birsayê te de jî ji qencîyê tê jimartin.*” [85]

Dema Resûlê Ekrem tiştek di dest de nebû ku li ser feqîran înfaq bike, ji şermîya xwe berê xwe bi rexê din ve difetiland. Ji lewma di vê xusûsê de ev ayet nazil bû:

“**Heke, ji ber ku çavê te li rizqekî ye ku tu wî ji rehma Xudayê xwe hêvî dikî, tu nikarî li wan binêrî, hîç ne be jî, ji wan re xebereke nerm bibêje**.” [86]

Di piştî vî emrê îlahî de dema îmkaneke Mezinê me nebû ku bide feqîran, wî ji bo qezenckirina dilê belengazan bi rûyê devlikenî û xebera xweş mûamele bi wan re dikir.

Li ser vî esasî tebessum-kirina mislimanî ji bira-dînê wî re, silav lê kirin û xebera xweş jê re gotin, îbadetekî îctîmaî yê wisan hêja ye ku hîç ew biçûk nayê dîtin. Lewra tebessum, ji bo mûmînan sunneteke mûekked e.

## REWŞA TEBESSUMA DOSTÊN HEQ

Ew mûmînên salih ku bi exlaqê Pêğember hatine stran jî, ji ber ku şexsîyetên bilind in û gihane qelbê selîm di her halê xwe de rêç û şopa Mezinê me Hezretê Pêğember taqîb kirine û dikin. Ew bi tebessumên xwe wekî mewsima biharê sirûr û hizûrê didin dilan.

84. Mûslim, Birr, 144.
85. Tirmizî, Birr, 45/1970; Ehmed, III, 344; Buxarî, el-Edeb’ûl-Mûfred, jimar: 304.
86. Îsra, 17/28.

Nezara wan ji bo rûhan dibe bahor. Ew bi sîmayên nûranî yên xwe tim û daîm Xuda û axretê di bîra mirovî tînin. Lewra ew tim û daîm, di wî halî de ne ku feyz û eksê ji Mezinê me Resûlê Xuda distînin.

Tişta ku li ummeta Mûhemmedî tê jî ev e; ew li hemberî bagerên heyatê karibe wekî Mezinê me û dostên Heq "tebîet gul" bibe. Lewra gul, ji ber tehemmula strîyên di çiqilên xwe de kiriye, bi rengê xwe yê xweş û bi rayîha'ya xwe ya sipehî di halê tebessumê de ye û ew ji hemû însanan re dibêje: "*Min bi çavê dil bixwînin û wekî min bibin!*"

Ğayeya dîn jî ha bi vî awayî însanên zarîf, sipehî û hessas gihandin û perwerde kirine. Mûmînên kamil, bi rûyên xwe yên devliken; ji gul, simbil, bilbil û hemû mexlûqatan re di halê silavê de ne. Alema dilî ya wan, wekî pencerekekê ji bo hemû mexlûqatan hatiye vekirin. Lewra mûmînên kamil; di hikmeta çîçekên ku bel dibin û darên bifêkî de kûr dibin û wek çîçekan rûh tenik û nazik, wekî darên bifêkî jî comerd û xwedî îkram dibin.

Hezretê **Cuneydê Beğdadî** jî ku yek ji dostên Heq e, îfade kiriye gotiye; di dostanîya bi dînê xwe re mûhîmtirîn şert û edeb, li hemberî wî tim û daîm devlikenîbûn û keyfxweş-kirina wî ye. Her wiha gotiye; **Ebû Osman Hîrî** jî îfade kiriye, gotiye; divê mirov her zemanî devlikenîyê şanî bide; bi şertê ku ne di gunehî de be. **Ebû Ebdûllah Salîme** jî beyan kiriye, gotiye; ziman- şîrînî û devlikenî wesfên farîqe yên dostên Heq in.

Hezretê **Haris el-Mûhasibî** wiha dibêje:

"*Xuy xweşî, bi çar tiştan e:*

*-Li hemberî ezîyetên ğafilan sebr-kirin e,*

*-Zêde hêrs nebûn e (wate ew karibe li hemberî devavêtinên cahilan bibêje: «Silav li we be» û bibûre),*

*- Karibe rûkenîya Îslamê şanî bide,*

*-Xwedî-bûna ji bo zimanekî keyfxweşker û hizûrbexş e.*"

Hezretê **Hesenê Besrî** jî exlaqê xweş wiha xulase dike:

"*Esasê exlaqê xweş, berferehkirina qencîyê, nerehetkirina ti kesî û rûkenîbûn e.*"

Hevîrê kaînatê, bi hevîrtirşê mehebbetê hatiye stran. Heke bi çavê dil li hemû kaînatê; ji alema mîkro bigre heta bi alema makroyê were meyzandin, wê xuya bibe ku her tişt di cewhera xwe de nîşanekê ji mehebbeta îlahî hildigre. Bağ û bostan, dehl û bexçe, av û kehnî, çîçekên ku bel dibin, perperîkên rengareng, çûkên ku bi çîkeçîk dixwînin ku li kaînatê tecellîyên sifetê cemalî yên Cenabê Heq in, ew tim tebessumeke îlahî tînin bîra însanî. Çi rewşeke ğemgîn e ku însan ji van rastîyan ğafil bimîne. Wezîfa ku dikeve ser milê însanî ev e; ew vê bevkenî û tebessuma îlahî îdrak bike û karibe wê di sîmayê xwe de ji mexlûqatan re bide şanîdan.

Ew mûmînê ku heyata xwe bi amelên salih îhya dike, di gava mirina xwe de li tebessuma sipehîtirîn rast tê. Ev rewş, di vê ayeta pîroz de çi xweş hatiye îfadekirin:

"**Bêguman ewên ku dibêjin: Rebbê me Ellah e, piştre xwe rast û durust dikin ferîşte têne cem wan û ji wan re dibêjin; «netirsin, ğemgîn nebin û bi wê cenneta ku peymana wê ji we re hatiye dayîn dilşad bibin.»**" [87]

Dîsa Xuda di ayeteke pîroza din de wiha dibêje:

"**Zanibin ku ji dostên Xuda re tirs nîn e; ewê ğemgîn jî nebin**." [88]

87. Fussîlet, 41/30.
88. Yûnus, 10/62.

Ew mûmîmên kamil ên ku karin tebessuma mehebbeta îlahî ji mexlûqatan re şanî bidin, kî dizane ka ewê li axretê ji bo çi xezîneyên mûhteşem ên tebessumê naîl bibin.

**Şêx Sadî**, di berhema xwe ya bi navê Bostan'ê de qissetekê diguhêze:

"Zilamekî exlaq xweş hebû. Vî zatî di bara mirovên ku xirabî (li xwe) dikirin de baş xeber dida, wî mûamela çak bi wan re dikir. Di piştî wefata wî de bi mûddetekê mirovekî ew di xewna xwe de dît û jê re got:

"-Di piştî mirinê de çi hate serê te, ji min re vebêje!.."

Wî zatê wefatkirî, devê xwe wekî ğunçeyeke gulê tebessum kir û vekir û bi dengekî xweş ê wekî bilbil jê re got:

"-Min di heyata xwe de bi ti kesî re mûamela dijwar û xirab nekiriye, min hîç ti wextekî rûyê dijwar şanî neda. (Min rûyê devliken ji her kesî re şanî daye.) Ji lewma bi min re jî dijwar û xirab mûamele nekirin.»"

Dostên Heq, dilên xwe xistine wekî dergehekî (tekîyakekê), ew bi ti awayan abûs û lêv daleqandî nayêne dîtin. Sîmayê dostên Xuda, ji dilê mûxatebên xwe re hizûrê bexş dikin û wan ji bo alemeke manewî diguhêzin. Dîsa ew dilên ğemgîn di serayên xwe de dihewînin, dixin mêhvan û hedana wan tînin. Her wekî ku alema dilî ya wan, merkezeke hizûr û rehabîlîte'yê ye.

Hikmeta eslî ya vê hizûrê jî ji bo vê ye; ew Xuda û axretê di bîra însanan tînin, ew însanan ji nigeranî û endîşeyên nefsanî û dinyewî yên ku rûh bêzar dikin û wan ji îhtîras û dilketinên zêde xilas dikin. Ji bilî vê jî ew însanan tînin ser îstîqametê û wan agahdar dikin ku hizûr û seadeta rastî, bi hewldan û cehdkirina di rêya seadeta ebedî de mûmkin e.

Hikmeteke din jî ya ku dostên Heq xwedî çehreyeke wisan bevken in ku ew hizûr û keyfxweşîyê tewzî (belav) dikin jî ew berpirsîya îrşadê ye ku li ser milê wan hatiye barkirin û danîn. Lewra di xizmeta îqaz û îrşada xelkê de bûna xwedî ji bo rûyê devliken û xeber xweş, fermaneke îlahî ye. Tebessum, di navbera mirov û yê hemberî mirovî de rabîteyeke dilî ye. Li ser vî esasî, di îrşadê de bi qasî rûyê devliken û xebera xweşa ku sipehîtirîn terzê bi nêrîna Xaliq meyzandina li mexlûqata ye, metodeke kartêker û pêwîst nabe.

Çawa di vê xusûsê de Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Ew dem bi rehmeke ji Xuda te bi wan re bi nermî bizav kir! Heke tu, xebertehl û dilhişk bûbayî, hîç guman nîn e ku ewê ji hawîrdora belav bibûna û biçûna**...” [89]

Di xizmeta îrşadê de li ser çi qeder giringbûna rûkenî, xeberxweşî û zarafetê **Şêx Sadî** dîsa di berhema xwe ya hîkemî ya bi navê Bostan’ê de wiha hîkayetekê diguhêze:

“*Xortekî ziman-şîrîn û rû devliken hinguv difirot. Ev, ciwanmerdekî wilo bû ku dil ji şîrînîya wî dişewitîn û dihelîyan. Bejna wî, pişta wî dişibiha şekir qamîşê ku bi sazê hatibû girêdan. Hijmara kirryarên wî ne diyar bûn.*

*Ew agîdekî wilo bû ku ferza mûhal heke wî hinguvî nefirota, lê jehr jî bifirota, her kesî wê ji destê wî jehr wekî hinguv vexwariba.*

*Yekî rûtirş jî ji firotina wî agîdî hesidî, çavnebarî ji qezenca wî kir û xwest ew jî hinguv bifiroşe. Tebela hinguv li ber serê wî bû, bi rûyê xwe yê ku sirke-firoşî tax bi tax gerîya. Bi dengê bilind her digot: «Hinguv, hinguv!» Lêbelê ne kirryaran, mêşekê jî li ser hinguvê wî nedanî.*

89. Alî Îmran, 3/159.

*Bû êvar, ew vegerîya malê. Qurûşek jî neketibû destê wî. Ew zehf hêrs bû, xwe da qozîkekê, ji xwe re rûnişt. Ew dişibiha guneh-karê ku ji xwarina cezayê gunehê xwe ditirse, dişibiha bedbextê ku roja cejnê di zîndanê de tê girtin.*

*Jina wî bi rûyê xwe yê letîf jê re got:*

*"-Hinguvê yê rûtirş tehl e!..."*

*Xuyê mekroh însanî dibe cehennemê. Xuyê baş jî ji cennetê hatiye.*

*Hevalo! Bimeşe, heke pêwîst bike ava germ ji çem vexwe, heke tu li ber taveroja kelijî biperitî jî ji destê însanê rûtirş şerbeta qerisî ya şekir nevexwe! Xwarina nanê kesê ku birhê wî wekî strî di hev re çûne, ji rûh re zîyankarî ye.*

*Rêzdar, karê xwe bi hare-harî xirto-pirto neke; lewra harehar tim û daîm bedbext dibin. Em ferza mûhal bibêjin; zêrê te, zîvê te, tiştekî te nîn e. Ma te zimanekî şîrîn jî nîn e?*"

Ha rûyê devliken û zimanê şîrîn, di îrşada mehrûmên ji îman û exlaqê xweş de yek ji sermayê mûhîmtirîn e. Rûyê abûstirîn jî dema di gulistanekê de di navbera çîçekên rengareng û bêhnxweş de birêve here, ewê bi sebeb sipehîtahîyên ku di rûhê wî de dix-uyê, tebessum bike. Ew kesên ku ji xelkê rêbertîyê dikin jî divê karibin qelbên hişktirîn û nezan jî nerm bikin û çehreyên abûstirîn jî bikenînin.

Mûmînên kamil kesên wisan e ku di nav vî haletê rûhî de sebr-dar, devliken in û derdên însanan jî li ser milên xwe hildigrin. Şert e ku mirov di nav teblîğeke meqbûl de xwedî dilekî hessas û çeh-reyeke mûtebessim be ku bi hikmetên Qur'an û Sunnetê hatibe stran û ew devlikenîya Îslamê şanî bide. Di xizmeta perwerda manewî de divê mirov ji bo xwe tebessum û teşekkura ji mûxatebên xwe re bike tebîetê eslî.

**Rebbê me, me tevan bixe ji mûmînên kamilên rûh nazik ên ku karin bi şefqet, merhemet û tebessumê ji her tiştên ku hatine xuliqandin nêzîk bibin. Ji dilên me mehebbeta îmanê û ji rûyên me jî devlikenîya Îslamê kêm neke!**

**Amîn!...**



# Edeb û Nezaket

*Edeb, bi qîmettirîn zadê rêwîyê Heq e. Însan hem dîndar hem jî serhişk, neberbihêr û bênezaket nabe.*

*Divê em jibîr nekin ku şeytan, ne bi sebeb îlmê xwe, yan jî nuqsanîya amelê xwe, lêbelê bi sebeb bê edebîya xwe ji hizûra îlahî hatiye qewirandin. Ji lewma sipehîtirîn fezîleta ku şeytên mehû dike, edeb e.*

*Ğayeya terbîya manewî ev; îdrak û şiûra ku ew 'tim û daîm di bin kameraya îlahî de ye' bi însanî bide qezenckirin, dê bi xêra vê îdrak û şiûrê jî, xesletên bilind ên her wekî nezaket, zarafet, edeb û heyayê jê re bibin tebîetê eslî.*

# EDEB û NEZAKET

Edeb, xusûsîyeteke wilo ye ku însanî ji mexlûqatên din dixe ferqdar. Însan; bi edeb, nezaket, zarafet û teqwa'ya xwe li cem Heq nirx û biha qezenc dike. Ji lewma ji fezîleta **edeb** û **nezaket**ê re di navbera wesfên sipehî yên dostên Heq de cihekî mûstesna û cihêwaz heye. Çawa çendîn mezinên manewîyatê jî tesewwuf, "**ji exlaqê xweş û edebê îbaret**" dîtine.

**Şahê Neqşebendî** -quddîse sirûh- ku di bin terbîya manewî ya **Hezretê Emîr Kulal** de bi edebeke kamil û nezaket hatibû perwerdekirin, wî di salên pêşîn ê întîsaba xwe de ji bo karibe ğurûr/quretî û kibra nefsa xwe bişikîne û li hemberî Rebbê xwe bi awayekî layiq hest bi halê "**hîçîtî**"yê bike, wezîfe jê re hatibû dayîn ku ew ji însanên nexweş û mûzderib re û ji heywanên birîndar re xizmetê bike û rêbiwarên mirovan paqij bike. Ew bi xwe, halê xwe yê wê demê wiha vedibêje:

"*Min mideteke dirêj di rêya ku xwacê min ferman kirî de xizmet kir. Şexsîyeta min kete rewşeke wisan ku dema ez di rê de dibûrîm, ez li hemberî her mexlûqatê Xuda radiwestam û min çavnêrî dikir ji bo pêşî ew bibûre. Min nikarîbû pêşîya wî gav biavêje. Vê xizmeta min heft salan dewam kir. Di mûqabilê vê de halekî wilo tecellî bû ku min dest pê kir di sûretê nalîna wan de hest bi dengên ku hezîn hezîn derdixistin û bi ber Heq ve îltîca dikirin, dikir.*"

Ha ji bo dilên ku bi hikmetê hatine nûrdar-kirin her tiştê li kaînatê, ji wan tecellîyan îbaret e ku qudret û ezameta îlahî îlan

dikin. Ji bo mirov karibe bigihîje vî halî, şert e ku rûh bi terbîya manewî riqqet û ziravîyê qezenc bike, bikeve rewşeke wisan ku menzareyên rûhanî bibîne, îbret ji wan bigre û di hikmetê de kûr bibe. Lewra çendîn sirrên ku bi aqil nayên fehmkirin, bi hikmetê têne çareserkirin. Heta mirov di hikmetê de kûr nebe sirrên manewî eyan nabin.

Edeb, bi qîmettirîn zadê rêwîyê Heq e. Însan hem dîndar hem jî serhişk, neberbihêr û bênezaket nabe. Lewra Îslam bi rûhê cewhera xwe; di îtîqadê de tewhîd e, di amel de jî **edeb**, îstîqamet û merhemet e. Li ser vî esasî mirov dikare bibêje; dînê Îslamê bi hemû bingehên xwe, ji serî heta bi dawîyê ji pîvanên nezaket, zarafet û nezafetê yanî ji "**edeba sipehî**" îbaret e.. Dostê Heq **Hezretê Mewlana** vê heqîqetê çi xweş îfade dike:

"*Çavê xwe veke û ji vî serî heta bi wî serî li kelamê Xuda binêre! Ayet bi ayet hemû Qur'an ji talîmatên/hîndekarîyên edebê îbaret e!*"

Dostên Heq jî hemû dereceyên ku bi wan wasil bûne bes bi edebên bilind ên xwe ji bo wan naîl bûne. Hezretê **Îmam Rebbanî** dibêje:

"*Hîç ti kesê ku edebê rîayet neke, di rêya wusleta Xuda de mesafê nagire, yanî nabe dostê Heq. Rêya mezinên dîn ji serî heta bi dawîyê edeb e.*"

Mûhîmtirîn edeb jî edeba li hemberî Xuda Teala ye ku wî em aferandine, xuliqandine;

## EDEBA LI HEMBERÎ ELLAH TEALA

Divê em jibîr nekin ku şeytan, ne bi sebeb îlmê xwe, yan jî nuqsanîya amelê xwe, lêbelê bi sebeb bê edebîya xwe ji hizûra îlahî

hatiye qewirandin. Ji lewma sipehîtirîn fezîleta ku şeytên mehû dike, edeb e.

**Hezretê Mewlana** vê wiha îzah dike:

*“Dema Îblîs ji Hezretê Adem re neçû sicûdê û li hemberî fermana Xuda rabû, got:*

*"-Zatê min ji agir e, zatê wî jî ji herîyê ye. Çawa çêdibe ku yê bilind ji yê xwarê re here sicûdê?"*

*Ha ji ber ku Îblîs bi bêedebî li hemberî Xuda rabû, lanet lê barî û ew ji hizûra îlahî hate qewirandin. Ji vê jî zêdetir wî bêedebî kir û bi Aferînerê xwe re kete cîdalê.*” [90]

**Ebû Elî Deqqaq** -rehmetûllahî eleyh- dibêje:

“*Terk-kirina edebê, qewirîna ji hizûra îlahî dide îcabkirin. Her kî li hemberî siltan bêedebîyê bike ew ji bo ber derî, ewê ku li ber derî bêedebîyê bike, ew ji bo axurê tê şandin.*”

Ecdadê me gotine; “edebê ji bêedebî hîn bibe” bi vî awayî şîret kirine ku mirov ji hal û aqîbeta bêedeban îbret bigre. Divê em jî ji xwe re dersa pêwîst ji wezîyeta ku şeytan ketiyê derxînin.

Ew bendeyê ku li hemberî Cenabê Heq bi awayê layiq xwedî edeb be, ji hereketên laûbalî direve; bi vê wesîlê haya wî ji xeta, ğeflet û qusûrên wî yên di îbadet û mûamelatê wî de, çêdibe. Ew bi êşa bawerbûna bi amelên xwe nakeve.

Divê em jibîra nakin ku çi qeder me amelê sipehî hebe bila hebe, ev hemû, wekî satilek av e ku di nav okyanûsê de were avêtin. Divê em hemû îbadet û xizmetên xwe li hemberî lutfên Cenabê Heq hindik bibînin. Divê em berpirsîya evdînîya xwe ne bi sewîya xwe ya di nav civakê de; lêbelê bi halê sehabe û ewlîyaûllah bikişînin,

---

90. Fîhî Ma Fîhî, rûp. 159.

biwezinînin. Lewra Cenabê Heq, Ensar û Mûhaciran ji me re nimûne şanî dide.

Li alîyê din ewê ku edeba evdînîyê bi awayê layiq dijîn, digihine şiûra; hemû sipehîtahîyên me ji Heq in, hemû qusûrên me jî ji nefsa me ne.

Kesekî ku terka îbadetan kiribe, yan jî ketibe rêya xirab, rabe bibêje; "ez çi bikim, qedera min wiha bûye!" îfadeyeke ğefleta nefsanî û şeytanî ye. Mesela Cenabê Heq, ji bo kesê ku dixwaze nimêj bike sebebên kirina wê îhsan dike; ji bo yên ku naxwazin nimêj bikin jî sebebên astengkar dide wan û nekirinê tecellî dike. Li ser vî esasî, di xusûsa gunehê ku kirin de xwe mazûr şanî bide, dibe "***buhtana li qederê***" ku ev jî li hemberî Heq bêedebîyeke mezin û ehmeqîtî ye. Ji xwe tişta ku lingê şeytanî şemitandî jî di vê xusûsê de ji wê bêedebîya ku wî şanî dabû pê ve, ne tiştekî din bûye.

Ji lewma tişta ku ji hemû tiştan bêhtir şeytên diqeherîne; di nuqta ku ew ketibû xetayê de, ew îtaet, riza û teslîmîyet e ku mûmîn li hemberî Heq şanî dide, wate "edeba evdînîyê" ye.

Yek ji mûhîmtirîn emancên tesewwufê ev e; însanî bigihîne îdraka "hesta îhsanê", wate wî bigihîne îdraka ku ew tim û daîm li hizûra Heq e û wî di zahir û batin de li hemberî Xuda bike xwedî edeb. Mezinên manewîyatê gotine:

"*Bi zahirê xwe û bi batinê xwe, xwe bi edebê bigre! Lewra heke kesek bi zahirê xwe di edebê de qusûrê bike, ew di zahirê xwe de ceza dibîne, heke di batinê xwe de di edebê de qusûrê bike, ew di batinê xwe de ceza dibîne. Kî edebê zayî bike, çendan ew xwe ji Heq nêzîk zen bike jî dîsa ew jê dûr e, digel ku ew xwe meqbûl zen dike jî dîsa ew merdûd e (hatiye redkirin).*" [91]

91. Rûh'l-Beyan, X, 401.

Ji lewma di bara tişta ku Rebbê me di bara me de teqdîr kiriye de di şûna ku mirov bi bêedebî bikeve cîdaleke şeytanane, bila mirov di wê anê de derhal stûyê xwe xwehr bike, riza û teslîmîyetê şanî bide û bila em ji bo xwe wê bi xêrtirîn tecellî bihizirin ku ew ji mûhîmtirîn edebên batinî ye..

❁

Rojekê dema zatekî ji alimên hedîsê **Bayezîdê Bistamî** yê di temenê ciwan de dît, ew pirr li xweşîya wî çû. Ji bo zeka û têgihiştina wî bipîve, jê pirs kir:

“-Zarokê sipehî! Tu bi maneya temam zanî nimêjê bikî?”

Dema Bayezîdê Bistamî jî bersiva wî da û jê re got:

“-Erê, ez bi îzna Xuda dizanim.” Wî jê pirs kir, jê re got:

“-Çawa?”

Bayezîdê Bistamî jî jê re got:

“-Ferman bike ya Rebbî, ez li hizûra te rawestame ji bo emrê te bînim cih, bi (vê) hissîyatê tekbîr tînim, dibêjim; الله اكبر; û ew Qur’ana Pîroz yeko yeko dixwîne; bi tazîm diçe rikûyê; bi tewazû’yê diçe sicûdê; bi xatir-xwestin silav dide.”

Ew zat jê re heyran dimîne, jê dipirse:

“-Zarokê biçûk! Dema ev têgihiştina kûr di te de hebe, naxwe çima tu dihêlî însan werin serê te miz bidin?” Lewra ew dihizirî ku çêdibe ev teqdîr û îltîfat nefsa wî bajon ser ğurûrê û divê ew cih nede vê.

Bayezîdê Bistamî yê ciwan vê bersiva arîfane didiyê:

“-Ew, ne min lêbelê wan sipehîtahîyên ku Ellah Teala ez pê xemilandime mesh dikin. Ma ez çawa karim nehêlim ew tişteke ku ne ya min e, asteng bikim?”

Ha yek ji edebên evdînîyê ya dîger jî ku divê dil pê bigihe ev e; mirov hemû sipehîtahîyan ji Xuda zanibe, wan ne li nefsa xwe vegerîne, nebêje ew yê min in.

Mezintirîn edeb, li hemberî zatê Cenabê Heq şanîdana tazîmê ye. Sipehîtirîn tezahura vê jî xwe di îbadetan de şanî dide. Dostên Xuda gotine:

“*Îbadet însên dibe cennetê; di îbadetê de edeb û tazîm jî mirov dibin cem Xuda, ji Heq re dixin dost.*”

**Enes bin Malik** jî gotiye:

“*Di amelî de edeb, ji bo qebûlbûna wî îşaret e.*”

**Xizr** (eleyhisselam) jî kirina vê dûayê tewsîye kiriye:

“*Xudayê min! Di xusûsa evdînîya min ya ji bo Te de, edeba sipehî ji min re îhsan bike!*”

Dostên Heq bi îlawe li ser van hemû halên edebê, ji bo ew bi şiûra ku tim û daîm di hizûra îlahî de dijîn, ew karin di edeba zahirî de heta tu bibêjî bes, îtînayê şanî bidin. Ev jî dike ku ew halê xuşû û edeba di îbadetê de, bi mûhafeze-kirina wan halan li derveyî îbadetê jî îfade dikin. Çawa Cenabê Heq ferman dike, dibêje:

“**Ew di nimêjên xwe de berdewam in**.” [92]

“**Ew nimêjên xwe mûhafeze dikin**.” [93]

**Hezretê Mewlana** maneya îşarî dide van ayetan û wiha dibêje:

92. Mearic, 70/23.
93. Mearic, 70/34.

“*Bende, halê xwe yê di nimêjê de di piştî nimêjê de jî mûhafeze dike. Bi vî awayî, ew emrekî temamê xwe, di edeb û xuşûyê de; zimanê xwe û qelbê xwe jî di nav mûhafezê de dibûrîne. Ev rewşa evîndarên rastîn e, wate halê dostên Heq e...*”

Ğayeya terbîya manewî ev e; îdrak û şiûra ku ew ‘tim û daîm di bin kameraya îlahî de ye’ bi însanî bide qezenckirin, wê bi xêra vê îdrak û şiûrê jî, xesletên bilind ên her wekî nezaket, zarafet, edeb û heyayê jê re bibin tebîetê eslî.

Hezretê **Dawudê Taî** wiha vedibêje:

“Ez bîst salan bi Hezretê **Ebûhenîfe** re mam. Min di zarfê vî zemanî de diqqet kir; ne di tenê-bûna wî de, ne jî di dema hinek mirov li cemê hebin de min hîç ew nedît ku serqot rûniştibe, yan jî wî bi mebesta îstîrahetê lingên xwe dirêj kiribin. Min jê pirs kir, jê re got:

"-Heke hûn bi tena serê xwe bin çi mehzûr têde heye ku tu lingê xwe dirêj bikî?" Wî ji min re got:

"-Li pêşberî Cenabê Heq bi edeb bûn hê çêtir e."

Dostê Heq **Hezretê Mehmûd Samî Remezanoğlû** jî di dirê-jahîya emrê xwe de nehatibû dîtin ku wî lingê xwe dirêj kiribe û wilo rûniştibe, yan jî wî pala xwe dabe cihekê û wilo xwarin xwa-ribe. Samî Efendî -rehmetûllahî eleyh- di dirêjahîya jîyana xwe de timsala (nimûneya) edeba bilind û nezaketê bû, wî di sohbetên xwe de jî zehf zêde ev malika ha dubare dikir:

*Edeb tacek bûye ji nûra Xuda*

*Wergire wê tacê emîn bibe ji her bela...*

Dîsa **Samsûnlû Huseyn Efendî** yê ku yek ji evîndarên Heq e, û heyata wî bi edeb, nezaket û zarafetê hatibûye tacdarkirin, birayê

me **Mûstefa Oqûtan** ê ku bi xizmeta şûştina cenazeyê wî rabûbû, halekî wî yê ku ew bizzat jê re bûbû şahid, wiha îfade kiribû:

"*Dema min Huseyn Efendî dişûşt pala lingê rastê wî li singa wî bû, me kir û nekir me nekarî wê veke. Dema me ew di qebrê de danî derhal ew li rastê xwe fetilî.*"

Bêşiwar ev, tecellîyeke mûstesna ye ku vê heqîqetê di bîra mirov tîne; "*însan li ser çi halî bijî li ser wî halî dimre, ew li ser çi halî bimre jî li ser wî halî tê heşrkirin.*" [94] Lewra Cenabê Heq hinek sirran, di hinek wext û deman de wiha şanî dide ji bo însan îbret jê bigrin.

Ew mirovên ku li hizûra siltanekî cîhanê bin, yan jî li hizûra mirovekî payebilind bin, çawa ew nikarin wekî di zeman û mekanên din de serbest hereket bikin, aynî wisan dostên Heq jî her daîm di hizûra Xuda de ne û wilo bi edeb hereket dikin, dilên arif jî vê heqîqetê dizanin û îhtiyac bi delîleke din nabînin û wilo hereket dikin.. Yanî ew wek aşnayên sirra vê ayetê ne:

وَهُوَ مَعَكُمْ أَيْنَ مَا كُنْتُمْ

"**... û hûn li kuderê dibin bibin Ew** (Xuda) **her bi we re ye..**." [95]

Her an û gava xwe di nav şiûra bi Heq Teala re bûnê de dijîn. Ji lewma halê wan ê edebê hemû bizavên wan dixe ber xwe.

Dîsa dostên Heq, di cihên tenha yên ji ber çavên mirovan dûr de jî dîsa li ser edebeke mûstesna dibin. Mesela di nimêjê de sernixumandina ku li hemberî Heq wek îfadeyeke îhtîramê ye, dostên Heq ku daîmî di keş û hewa'ya îbadetê de dijîn ji bo wan sernixumandin edebeke wisan e ku ew li derveyî nimêjê jî rîayeta wê dikin..

94. Mûnawî, Feyzû'l-Qedîr, V, 663.
95. Hedîd, 57/4.

Dema yekî ji sehaban ji **Mezinê** me **Pêğember** pirs kiribû; gelo yek di cihekî ku ti kes lê nebe de di mijara lixwekirin û qîyafetê de dikare rehet hereket bike, yan jî ew nikare rehet hereket bike?

Mezinê me Pêğember jê re gotibû:

"*Xuda, ji bo jê heyakirinê ji însanan bêhtir layiq e.*" [96]

Ecdadê me ku dinyaya dilî ya wan bi terbîya Îslamê hatiye stran jî di mijara edeb, îffet û namûsê de sewîyekeke mûhteşema exlaqî şanî dane ku temamê cîhanê ji wan re heyran maye.

Çawa **Salomon Schweigger** ku heta tu bibêjî bes papazekî mûteessib ê Protestan e jî di Seyahetname'ya xwe de dema mislimanan vedibêje, wiha gotiye:

"*Misliman di hemamê de jî nixumandekekê li xwe dikin. Çi însanên bi edeb in! Divê em edeb û namûsê ji van kesên ku em ji wan re barbar dibêjin, hîn bibin.*" [97]

Nixumandin keyfîyeteke aîdê însan e. Ji bo mexlûqatê din xwe nixumandin ne mewzûbehs e. Ji bilî vê jî xwe nixumandin, edebeke fitrî ya evdînîyê ye. Çawa **Hezretê Adem** û **Hezreta Hewwa** digel ku li cennetê ti însanê din nebûn jî dîsa heya kirine; di nav dilrehtîyê de hewl dane xwe bi pelçiman binixumînin. Naxwe xwe nixumandin û edeb û heya'ya ku tehfînerê wê ne, yek ji wesfên kokdartirîn e ku di fitreta însanî de hene.

Ew edeba ku divê li hemberî Xuda were hiskirin, li gorî dereca nêzîkbûna wan ji wî, hemû heyberan dixe ber xwe. Di piştî edeba li hemberê zatê Xuda de, edeba duyema ku li pey wê tê jî edeba li hemberê Mezinê me Resûlê Xuda ye.

96. Ebûdawud, Hammam, 2/4017.
97. Î. Ortayli, Osmanliyi Yeniden Keşfetmek, rûp. 88.

## EDEB-GIRTINA JI MEZINÊ ME PÊĞEMBER RE

Eshabê kîram mûkemmeltirîn nimûneyên hîssîyata hurmet û edebê yên ku îcab dike li hemberî Mezinê me Resûlê Xuda were hiskirin, raxistine. Wan ev halê xuşû û edeba xwe ya ku di sohbetên Mezinê me de li xwe dikin wiha îfade kirine:

"*Her wekî ku teyrek li ser serê me hebe me zen dikir ku heke em xwe tevbidin ewê bifire.*" [98]

Edeba eshabê kîram li hemberî Mezinê me Resûlê Xuda di wê derecê de bû ku -zehf zemanan- cur'et teleqqî dikirin pirsa ji wî bikin. Wan çavnêrî dikir û ji xwe re digot; xwezî bedewîyek ji çolê bihata, pirsan bike û ji bo sohbetê bibe wesîle, em jî ji sohbeta Mezinê me feyzyab bibûna.

Di navbera eshabê ku her dem bi Resûlûllah re diman de jî pirr hindik hebûn ku ji ber edeba xwe karîbûn li nûra cemala Wî têr têr temaşe bike. Heta dema ew pê re di sohbetê de bûn jî hatiye rîwayet kirin ku ji bilî Hezretê Ebûbekr û Hezretê Ûmer eshabê din her dem li ber xwe dimeyzandin, bes van herdu eshabîyan karîbûn werin pêş çavên Hezretê Pêğember. [99]

**Emr bin As** ê ku piştre bi unwana fatihê Misrê ketiye tarîxê ev rewş, di dawîya emrê xwe de wiha anîye zimên:

"*Ez demeke dûv-dirêj bi Mezinê me Resûlûllah re mam. Lêbelê ji ber hesta tazîm û heya'ya ku min di hizûra wî de his dikir, min nekarî serê xwe rakim û têr têr wechê nûrdarê wî seyr bikim. Heke îro ji min re bibêjin; «wesfê Resûlûllah ji me re bide, wî ji me re vebêje» bawer bikin ez nikarim wî vebêjim.*" [100]

---

98. Li Ebûdawud, Sunnet, 23-24/4753; li Îbnûmace, Cenaîz, 37'an binêrin.
99. Tirmizî, Menaqîb, 16/3668.
100. Mûslim, Îman, 192.

Em jî dema cur’et dikin di nav îmkanên sînordar ên peyvan de Mezinê xwe Fexrê Kaînatê vebêjin, bi sebeb eczîyeta xwe di xusûsa edeb û nezaketê de ji ber qusûrên me yên ku bêhemdî çêbûne, em xwe diavêjin nav deryaya meğfîreta Rebbê xwe.

Li alîyê din çi dema îsmê şerîf ê Mezinê me Resûlê Xuda were zikrkirin selat û selam li serê dan jî yek ji wan edeba ye ku Cenabê Heq ji bo me Ummeta Mûhemmed ferman kiriye.

Xuda di ayeta pîroz de wiha ferman dike:

“**Bêşiwar Xuda û melaîketên xwe zehf selewatan li ser Pêğember didin. Gelî mûmînan! Hûn jî selewatan li ser wî bidin û bi teslîmîyeteke temam selamê lê bikin!**” [101]

Çi nîmet e ku di Qur’ana Pîroz de pêğemberên din bi navê wan behsa wan hatiye kirin lêbelê xîtabeke wekî “ya Mûhemmed!” ji bo Mezinê me Hezretê Pêğember nehatiye kirin. Bi peyvên wekî “ya Nebî, ya Resûl” xîtab jê re hatiye kirin. Cenabê Heq hemû mûmînan jî ji bo vê edebê dawet dike:

“(Gelî mûmînan!) **Wekî ku hûn di nav xwe de hev bang dikin wisan Pêğember bang nekin!..**” [102]

**Îbnû Ebbas** di bara vê ayetê de wiha gotiye:

“*Însanan bi peyvên «Ya Mûhemmed, ya Ebû’l-Qasim» bi Resûlê Xuda re xîtab dikir. Ellah Teala ji bo şerefa Pêğemberê xwe bilind bike ew ji xîtaba wiha men kirine. Di piştî vê de êdî însanan bi peyvên «ya Nebîyellah, ya Resûlellah!» xîtab kir*.” [103]

Ji lewma bi navê wî tenê bangkirina ji bo Mezinê me Hezretê Pêğember ji edeba ummetbûna Wî re dijber e. Divê bi navê mûbarek

101. Ehzab, 33/56.
102. Nûr, 24/63.
103. Ebû Nûeym, Delaîl, I, 46.

ê wî re wesfên ulwî yên wî jî werin teleffuzkirin. Ji bilî vê jî divê mirov ji bo her tiştê ku nêzîkatîya wî ji Mezinê me pêğemberê Xuda re hebe, edeb û nezaketê şanî bide.

Ev halê **Yavûz Selîm Xan** ê siltanê Osmanîyan ku yek ji evîndarên Pêğember bû, çi talîma edebeke sipehî ye:

Yavûz Selîm Xan di sala 1517'an de Misr fetih kiribû û meqamê xîlafetê ji uhdeya xwe re kiribû emanet. Roja înê 20'ê Reşemîyê di Mizgefta Melik Mûeyyed de xutbe dihate xwendin, xetîb di bara wî de got:

"**Hakîmû'l-Heremeyni'ş-Şerîfeyn**/hukmdarê herdu bajarên şerîf Mekke û Medînê" wî derhal mûdaxele kir, bi çavekî hêstirbar cewab da û jê re wiha got:

"**Na, na! Tam berevajî vê xadîmû'l-Heremeyni'ş-Şerîfeyn**/ xizmetkarê herdu bajarên bi şeref Mekke û Medînê!"

Piştre wî xalî rakir û ji bo Rebbê xwe li ser axê çû sicûda şukrê. Wek îfadeyeke ku ew xizmetkarê Heremeyniş-şerîfeynê ye jî perikeke di şeklê melkis de bi şaşika xwe ve kir. Tezahureke din ji şaheserên wê edeb û hurmeta ku wî li hemberî bajarê pêğemberê Xuda hestpê dikir jî aîdê siltanê mezlûm û şehîd ê Osmanîyan **Ebdûlezîz Xan** e.

Rojekê ew li ser doşeka nexweşîyê de zipûzer bûbû û di halekî bê mecal de dikir binive, jê re gotin:

"Arzahalek ji xelkê Medîna Mûnewwer heye!"

Ebdûlezîz Xan ji yawerên xwe re got:

"*-Derhal min rakin ser pêyan! Bila ez şipya li daxwazên ku ji Heremeynê hatine guhdarî bikim! Daxwazên cîranên Resûlê Xuda, wiha bi şeklekî lingê xwe dirêjkirî û ji edebê re mûğayir nayêne guhdarîkirin!...*"

Her dema postayê Medîna Mûnewwer dihat, desmêja xwe nû dikir, digot; ev mektûbên ha: “-di van de toza Medîna Mûnewwer heye!” maç dikirin, didanî ser enîya xwe û wilo dibirin, piştre ew ji serkatib re dirêj dikirin û jê re digot: “-Veke, bixwîne!”

## EDEBA LI HEMBERÎ DOSTÊN HEQ

**Ebû’l-Leys** -rehmetûllahî eleyh- di piştî tefsîra ayeta: “(Gelî mûmînan!) **Wekî ku hûn di nav xwe de hev bang dikin wisan Pêğember bang nekin!..**”[104] de dibêje:

“*Ji bilî vê, ji vê ayetê tê fehmkirin ku divê hurmet ji xwacên salih re jî were girtin ên ku îlmên bi feyde didin hînkirin. Wê îşaret pê daye ku divê rîayeta heqên xwacan û însanên sahibê fezîletê jî were kirin.*

*Ji ber vê ye ku dema behsa dostên Heq were kirin bi kîjan zimanî dibe bila bibe, divê ji bo wan ew lefzên ku xatir û hurmetê îfade dikin werin bikaranîn. Lewra li gorî nehî warid bûye ku çênabe em bavên xwe yên maddî jî bi navên wan ê normal gazî bikin, naxwe ew dostên Heq ên ku ji bo me bavên manewî ne, bifikre ku bi navên wan tesrîh kirin çi qeder bê edebî ye!*” [105]

Yanî ew edeba ku divê ji Mezinê me Pêğember re were şanîdan yek ji mûhîmtirîn tezahurên wê jî şanîdana edeb û nezaketê ji dostên Heq alim û arifan re ye ku ew jî warisên Wî ne.

Ji bo înkîşafa manewî, divê bi tewazû û edebê mûraceat ji rêberîya dostên Heq alim û arifên warisê pêğember re were kirin û hewldan were kirin ji bo jidilûcan şîret û tewsîyeyên wan werin tetbîqkirin. Divê mirov cîrantî û bûna di bin terbîya dostên Heq de

104. Nûr, 24/63.
105. Rûhû’l-Beyan, VII, 447.

nîmet zanibe. Lewra ewê ku bi edeb were hizûra wan, ewê bi lutfê ji cem wan biçe.

Mezinê me Pêğember gotiye:

"*Xwe ji fîraseta mûmînî biparêzin! Lewra ew bi nûra Xuda dimeyzîne.*" [106]

Îqaza "xwe biparêzin!" a di hedîsa şerîf de tê vê maneyê; "bi hesabên dizî û şîlobûnîya dil neçin hizûra mûmînên kamil! Ew, bi fîraseteke mûstesna wan tiştên ku hûn hewl didin veşêrin, dibînin." Ji ber vê hatiye gotin: "Li cem aliman xwedîtîyê li zimanê xwe bike, li cem ewlîya jî xwedîtîyê li qelbê xwe bike!"

Li ser vî esasî, divê mirov li hemberî dostên Heq ku ew ji bo nezara rehmeke xusûsî ya Cenabê Heq bûne mûxateb bi titîzîyeke hê mezintir û edebê rîayet bike. Li hizûra wan bê destûr wergirtin axaftin, rûniştin, rabûn, bizavên tund kirin çawa îstîfadekirina manewî ya ji wan zaîf dike, aynî wisan ğezeba Heq jî celb dike.

Dema siltanê Osmanî yê dil-arif **Yavûz Selîm Xan**, diçû hizûra welîyan bi edebeke mezin û mehwîyet şanî dida, heta pêwîst nebûba kelîmekeke tenê jî nedipeyivî. Çawa wî li Şamê di zîyareta welîyê mezin **Hezretê Mûhemmed Bedexşî** de hîç xeber nedaye, bes lê guhdarî kiriye û piştre jî wisan ji hizûra wî derhatiye. Zilamên dewletê yên pê re ji vî halê wî şaş bûn, jê pirs kirin, jê re gotin:

"-Siltanê me! We bes guhdarî kir. Çi hikmet e ku we xebereke tenê jî negot?" **Yavûz Xan** jî di bersiva pirsa wan de ev got:

"-Di dîwana ewlîyaûllah ên mezin de dema ew bipeyvin axaftina dîgerên wan -çendan ew padîşahê cîhanê be jî- ne mûnasib e. Heke em siltan bin jî dîsa di her wextê de îhtiyaca me bi himmeta siltanên manewîyatê yên wiha heye. Heke di hizûra wî de axaftina

106. Tirmizî, Tefsîr, 15.

min îcab bikira, wî yê ew dîyar bikira û wî yê axaftina min temîn bikira.”

Ha **Yavûz Selîm Xan**, li hemberî ehlê qelb edeb û hurmeteke wiha bilind şanî dida. Wî hesta heyran-mayîna xwe ji wan re di beyteke şiêrên xwe de wiha îfade kiriye:

*Padîşahê alemê bûn xirecireke ziwa bûye,*

*Ji welîyekî re bende bûn ji tevan ‘ela bûye...*

Osmanîyan ku ji padîşahên wan bigre heta bi xelkê wan li hemberî dostên Heq bi edeb û mehebbeteke mûstesna temayuz kirine (ji dîgerên xwe cuda bûne), heta bi dawîya serdema wan jî kaptanên ku Tengavê (Boğazê) de seferên deryayê dikirin; dema wan rêwîyên xwe di Uskudarê re derbas dikirin ji bo **Ezîz Mehmûd Hudayî** -quddîse sirûh-, dema di pêşîya Beşiktaşê re derbas dibûn ji bo dergehê (tekya) **Hezretê Yehya Efendî** û dema di Beykozê re jî derbas dibûn berê xwe didan alîyê **Yûşa** (eleyhisselam) û rêwîyên xwe ji bo “Fatîha” xwendinê dawet dikirin.. Ha di hinek zemanan de xelkê Stanbulê edeba wan li hemberî welîyên mezin ên li bajarên wan medfûn wiha bû!

Cewhera peyvê ev e; edeb, xusûseke wisa ye ku Îslamê ew li mirovan daye talîmkirin û heta tu bibêjî bes jî giringî pê daye. Ev hessasîyet, di serî de jî ji bo Xuda, ji bo Pêğember, ji bo dostên Heq, ji bo dê-bavan, ji bo temamê mûmînan û di halê silsilê de heta ji bo temamê mexlûqatan dirêj dibe û diçe.

Zengînîya zêr û zîv xilas dibe diçe, lakin zengînîya edebê her baqî û xilasneber dimîne. Naxwe em wek mûmîn, divê qaîdeyên edebê hîn bibin. Divê em ji bo zindî girtina wan îtînayê şanî bidin. Divê em bi xwe wan di heyata xwe de bijîn ji bo em ji mirovên din re jî bibin nimûne. Ji bo vê jî divê em serî li kitêbên Edebên Mûaşeretê bidin û em ji wan hîn bibin ka em karin çawa halê xwe

sipehî bikin. Ya ji vê jî mûhîmtir em bi ehlê edebê mûmînên salih re hevhal bibin û em hewl bidin ku halê xwe jî bixin wekî halê wan.

**Cenabê Heq, halê sipehî yê Pêğember ê ku Wî bi xwe bi terbîya îlahî ya xwe ew edeb kiriye, bike nesîbê me tevan! Me bikê ji mûmînên ku para xwe ji tevna dilî ya dostên Heq, bendeyên alim û arif digrin û lutfa xwe li me bikê û me bikê mûmînekî zarîf, reqîq, nazik û ji ehlê edebê!**

**Amîn!..**



# *Uslûba Axaftinê Ya Ku Qur'anê Ew Daye Hînkirin*

*Qur'ana Pîroza ku ji bo mûkemmeltirîn qudreta îfadê makes (xuyageh) e, ji me jî îfadeyên wekî pirlanta dixwaze. Lewra divê sipehîtî, nezaket û zarafeta Îslamê, bi sipehîtahîya lîsanî jî were raxistin.*

*Hikmet û sirrên Qur'anê, wekî okyanûsekê kûr in. Lêbelê herkes bi qasî kûrahîya dilî ya xwe ji wan îstîfade dike. Heke îstîaba (wergirîya) dilî ya kesî bi qasî gustîla dirûtinê ya terzî biçûk be, ew nesîbê ku karibe ji wê deryaya bêserî û bêbinî bigre jî wê bi qasî wê dibe.*

# USLÛBA AXAFTINÊ YA KU QUR'ANÊ EW DAYE HÎNKIRIN

Îman; bi mehebbeteke semîmî bi Xuda ve bendbûn e. Mehebbet, di rêya wusleta Xuda de mezintirîn sermayê mûmînî ye. Lêbelê mehebbeta ku xwe neguhêze nav bizavan û di peyvan tenê de bimîne, bi tena serê xwe ne kafî ye. Netîca kamila mehebbetê, bi rîayetkirina edebê tê bidestxistin.

Edeb jî wekî bêhna gulê ye ku keyfxweşîyê dide rûh. Îcab dike ew bêhn, bi awayekî sipehî li tevna dilî ya mûmînî nifûzê bike û ew di her sefha (merhela) jîyana wî de were hiskirin. Çi dema wesfê zal û hakimê bizavan bikeve halê edebê were, ev di aynî zemanî de tescîla kemala îmanê ye.

Lewra bi vegotina dostê Heq **Hezretê Mewlana**;

"*Aqilê min ji qelbê min pirs kir, jê re got; «Îman çi ye?» Qelbê min xwe tewand ber guhê aqilê min, jê re got: «Îman ji edebê îbaret e!»*"

Ji lewma her hal û hereketên dostên Heq mûmînên kamil, talîma edebeke bilind û nezaketê ye. Rebbê me jî di Qur'ana Pîroz de bi endazên ku dane zanîn, me ji bo edeba evdînîyê dawet dike.

Di serê bizavên beşerî yên ku divê bi qaîdeyên edebê ve werin bendkirin "**axaftin**" tê. Axaftin wekî ayneyeke mûcella ye ku sewîya aqilî û qelbî ya însên û rewşa îmanî û exlaqî ya wî şanî dide.

Çawa mezinan gotiye; "însan, di bin zimanê xwe de veşartî ye." Ji lewma axaftina mûmînekî gîyan-tenik û zarîf jî (wekî wî) nazik û biedeb dibe. Ev hadîse, ji bo wê çi mîsaleke sipehî ye:

**Qubas bin Uşeym** (Xuda jê razî be) dibêje:

"-Ez û Hezretê Pêğember di Sala Fîl de welidîne."

Osman bin Effan jê dipirse, jê re dibêje:

"-Tu mezintir î, yan jî Mezinê me Pêğember?" Ew sehabîyê mûbarek, vê bersiva nimûneya edebê dide, dibêje:

"-Pêğember zehf zehf û bi dereca ku nakeve nava tarîfê ji min mezintir e. Lêbelê di wîladetê de ez ji wî kevintir im.." [107]

Ha rûhziravîya di nifşa nimûneyî de, halekî ku xwe di lîsanî de daye xuyakirin.. Îcab dike mirov bihizire ku hessasîyeteke dilî ya ku bikaranîna zimanekî ev qeder nazik, zarîf û tenik telqîn dike, dide hînkirin û wergirtin; gelo mehsûla kîjan terbîyê ye, ma mehsûla kîjan perwerdê ye?.

Li kaînatê hemû heyber bi zimanê xwe bi zikr û tesbîhên Heq re mijûl dibin. Di navbera mexlûqatan de bipêşketîtirîn awayê zimanî jî ji nesla însan re hatiye lutfkirin. Çawa Xuda di Qur'ana Pîroz de dibêje:

"**Rehman, Qur'an daye hînkirin, wî însan aferandiye û beyan li wî daye fêrkirin**." [108]

Di vê daxuyandina Rebbê me de ku ji me evdên xwe re dibêje; me Qur'an daye hînkirin û di pey wê de jî dide zanîn dibêje; me qabilîyeta beyanê, yanî amadehîya axaftin, îzah îfade-kirinê daye

107. Tirmizî, Menaqîb, 2/3619.
108. Rehman, 55/1-4.

însên, di vê xusûsê de çendîn hikmet hene ku divê mirov li serê tefekkur bike..

Di serî de Rebbê me, di mûnasebetên navbera însanan de ji me evdên xwe uslûbeke axaftinê ya wisan ku bi endazên Qur'anê hatibe terbîyekirin û awa û şekl wergirtibe, dixwaze.

Li alîyê din yek ji mûhîmtirîn wesfê Qur'ana Pîroz jî fesahet û belağeta wê ye, wate qîmetê bêhempa'yê edebî yê wê ye. Her berhema fanî ku çend caran were xwendin bêzarbûnê dide. Lêbelê Qur'an çi qeder were xwendin, ew qeder lezzeta wê zêdetir dibe.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Ellah, sipehîtirînê peyvan, wek kitêbeke ku ayetên wê lihev hatine, bêzarbûnê nade û dubare dubare tê xwendin, anîye xwarê.**"[109]

Çawa seydayên peyvê, şairên ereban ku di pêşangehên edebîyatê de yekem dihatin, dema wan qudreta bêhempa'ya fesahet û belağeta ayetên Qur'anê dîtibûn, mecbûr mabûn ku herin şiêrên xwe yên bi dîwarên Ka'bê ve daleqandî, jê bikin.

Ji lewma mûmîn ji bo Qur'anê bûne mûxateb ku ew bi xwe mûcîzeyeke kelamî ye, lazim e mûmîn hewl bidin ku exlaqê xwe jî bikin wekî exlaqê wê û ji sipehîtahîyên wê yên kelamî jî nêzîk bibin. Wate, ew Qur'ana Pîroza ku ji bo qudreta îfadeya mûkemmeltirîn bûye makes (xuyageh), ji me jî îfadeyên pirlanta'yî dixwaze. Ji bo mirov karibe mebesta xwe bi awayekî sipehî û bibandor îfade bike, şert e mirov zimanekî tekûz hebe ku wekî aveke berraq herkbar be û hizûrê bide rûh. Lewra divê sipehîtî, nezaket û zarafeta Îslamê, bi sipehîtahîya lîsanî jî were raxistin.

109. Zumer, 39/23.

## AŞNABÛNA JI BO ZIMANÊ REHMÊ YÊ QUR'ANÊ

Hikmet û sirrên Qur'anê, wekî okyanûsekê kûr in. Lêbelê herkes bi qasî kûrahîya dilî ya xwe ji wan îstîfade dike. Heke îstîaba (wergirîya) dilî ya kesî bi qasî gustîla dirûtinê ya terzî biçûk be, ew nesîbê ku karibe ji wê deryaya bêserî û bêbinî bigre jî wê bi qasî wê dibe. Hemû mûmîn ewam-xewas li pêşîya heman rehlê li ser çokên xwe dirûnin, Qur'anê dixwînin. Feqet herkes bi qasî sewîya qelbî ya xwe para xwe jê digre. Maneyên Qur'anê bi qasî dereca nêzîkbûna evdî ji Heq, jê re vedibin.

Naxwe divê em ji xwe bipirsin: Gelo meraq û elaqa me li hemberî Qur'ana Pîroza ku Aferînerê me yê ku hemû alem ji tineyî anîne wicûdê, ji me re şandiye di sewîyekeke ewqas bilind û dereceyeke wisan de ye ku bi meraq û elaqa me ya li hemberî nameyên ku ji fanîyan tên, nayên qiyaskirin? Gelo em çi qeder wê dixwînin û em çi qeder hewl didin maneyên wê fehm bikin û bigihîjin hikmetên wê? Gelo em maneyên wê yên ku fehm nakin ji zanayan dipirsin û em bi awayekî têr bi mûhtewaya wê re mijûl dibin?

Ha dema em karibin ji bo van pirsan bersivên tetmînkar bidin, hingê emê karibin ji bo zimanê rehmê yê Qur'anê aşna û çavnas bibin.

Bila em wan ğeyretên ku ji bo hînbûna zimanê beşerekî yê bi derdê meîşeta dinyewî û apoletê têne şanîdan, bihizirin: Nexasim di roja me de em bûne ku di dinyayeke global de dijîn. Ji lewma însan ji bo hînbûna zimanekî bîyanî diçin fêrgehan, emek û cehdên ciddî xerc dikin û mesrefên mezin dikin. Heta qismekî ji emrê xwe jî li welatên ku bi wî zimanî dipeyvin xilas dikin. Êdî wisan bûye ku ev kar, bûye sektoreke mezina bazirganîyê.

Tebîî ye ku hînbûna zimanekî tiştekî baş e. Lêbelê Cenabê Heq ku aferînerê hemû zimana ye, ji me bendeyên xwe dixwaze em

şeref û heysîyeta însanîyetê mûhafeze bikin û wilo bijîn di serî de zimanê ku divê em hîn bibin "**zimanê Qur'anê**" ye. Ev jî ne hînbûna erebîyeke rijî û ziwa ye, hînbûneke wisan baş e ku em karibin bi zimanê rehmê yê Qur'anê bipeyvin. Rêya vê jî; pêşî em li gorî îqazên Qur'anê zimanê xwe rast û terbîye bikin, piştre jî em zimanê xwe bi telqînên îlahî sipehî bikin û bibûrin.

Di roja me de gellek diltengîyên ku di mûnasebetên însanî de têne holê, serkehnîya wan şaş bikaranîna zimanî ye. Lewra ziman, çawa dikare bibe kilîla xêrê, aynî wisan heke ew rast û durust neyê bikaranîn dikare ji bo şerrê jî bibe kilîl. Ji lewma îcab dike ku em diqqet bikin ji bo zimanê me nebe strîyekî ku bikeve qelban.

Çawa ecdadê me gotine:

"Birîna şûr tê hev û rehet dibe, birîna ziman nayê hev û rehet nabe."

Ji lewma divê em berî bipeyvin pêşî bifikrin û nuqteya ku peyv wê bigihîyê jî hesab bikin. Lewra peyvdan, her wekî tu bi destê xwe rajî kevirekî û wî biavêjî ye. Divê însan diqqet bike ka ew kevir wê li kuderê bikeve.

Mezinê me Pêğember bi îşaretkî bal kişandiye ser vê nuqtê û gotiye:

"*Peyvekê nebêje ku ew ji te uzr xwestinê lazim bike!..*" [110]

Peyva ku hatibe gotin, wekî tîrekê ye ku ji kevanî derketibe; ne mûmkin e, ew careke din li kevanî vegere. Însan, berî bipeyve li ser peyva xwe desthilat e, lêbelê piştî peyivî, ew ji bo wê peyva xwe dibe mehkûm. Peyva ku nehatibe gotin, her dem ji bo gotina wê îmkan heye. Lêbelê peyva ku hate gotin jî her dem divê mirov berevanîyê jê bike, yan jî hesabê wê bide.

110. Îbnûmace, Zuhd, 15.

Mûmînên kamil, pêşî diqqet dikin ka ew peyva ku ewê bibêjin feyde dide yan nade, heke ewê zirarê bide wan bi xwe, yan jî ziyanê bide mûxatebê wan, hingê ew sikûtê tercîh dikin. Ji bilî vê jî, ew ji bo vê jî îtînayê şanî didin; bila ew kîjan peyvê di kîjan sewîyê de û bi çi awayî bibêjin.

**Hezretê Ebûbekr** çi xweş îqaz dike:

"*Baş bifikre ka te çi gotiye, te ji kî re gotiye, te ew kengê gotiye!*"

Divê mûmîn xwedî fîraset be. Divê ew uslûba axaftina xwe li gorî mûxatebê xwe eyar bike. Lewra bizaveke ku kesekî keyfxweş dike, dibe ku ew kesekî din jî ğemgîn bike. Ji lewma divê mirov karibe rewşa psîkolojîka mûxatebê xwe tesbît bike û du-sê merheleyên bi şûn de jî bifikre, paşê peyva xwe bibêje. Wate îcab dike ku peyva di dawîyê de were gotin, di serî de neyê gotin. Însan jî daîmî ji bo nesîhet û beyanatên mirovên wiha xwedî fîraset heyram dimînin û îtîmada wan lê tê.

Ji lewma Mezinê me Pêğember ji însanan re di bara mijarên ku jê re elaqe şanî didan de dipeyvî û uslûbê axaftina xwe li gorî sewîya îdraka mûxatebê xwe eyar dikir. Wî ji bedewîyekî re bi qasî ku wî fehm dikir esasên bingehîn teblîğ dikirin; ji bo sehabîyên îstîdad bilind jî sirr û hikmetên di sewîya xewasan de jê re diguhastin.

Çawa Mezinê me Pêğember bi **Hezretê Ebûbekr** re sohbeteke xusûsî dikir, **Hezretê Ûmer** jê vê sohbetê re bû şahid, digel îlm û îrfana xwe ya mezin jî gotiye:

"*Ez li cem wan bûme her wekî yekî ku Erebî nizanibe. Min tiştek ji peyvên wan fehm nekir.*"

Ha ji bo cih neyê dayîn ku heqîqetên wiha bilind ji terefê îdrakên ne-kûr ve şaş werin fehmkirin, Mezinê me Pêğember gotiye:

"*Hey Îbnû Ebbas! Tişteke ku bi aqilê însanan nakeve ji wan re nebêje. Lewra heke tu wiha bikî, tu yê bibî sebeb ku ew bikevin fitnê.*"[111]

**Hezretê Mewlana** jî her wekî ku vê hedîsa şerîf şerh bike, wisan nesîhet kiriye, gotiye:

"*Li sûka koran mirêkan (ayneyan) nefiroşe, li sûka kerran jî ğezelan (şiêran) neavêje!*"

Rojekê Resûlê Ekrem li ser hêştira xwe siwar û hevalên wî jî li pêşîya wî diçûn. **Mûaz bin Cebel** jê pirs kir, jê re got:

"-Ya Qasidê Xuda! Heke ezê we nerehet nekim, hûn destûra min didin ku ez ji we nêzîk bibim?

Dema Mezinê me destûr da, Mûaz pirs kir, jê re got:

"-Ya Resûlellah! Canê min bi gorî te be. Nîyaza min ji Cenabê Mewla ev e; ew emanetê me berî Te ji me bistîne. Xuda neke, lêbelê heke Tu berî me wefat bikî, Em piştî Te kîjan îbadetan bikin?"

Hezretê Pêğember bersiva vê pirsê neda. Ji lewma Mûaz pirs kir, got:

"-Ma em di rêya Xuda de cîhadê bikin?"

Mezinê me Pêğember got:

"*Di rêya Xuda de cîhad tiştekî sipehî ye; lêbelê ji bo însanan tişteke ji vê bi xêrtir jî heye.*"

Mûaz got:

"-Yanî rojî girtin, zekat dayîn e?"

Mezinê me Pêğember got:

111. Deylemî, V, 359.

“-*Rojî girtin û zekat-dayîn jî tiştekî sipehî ye*.”

Mûaz li ser vê minwalê hemû qencîyên ku însanî kirine yek bi yek jimartin. Resûlê Ekrem jî di her carê de digot:

“-*Ji bo însanan tişteke ji van bi xêrtir jî heye*.”

Çi dema Hezretê Mûaz ji Pêğemberê Xuda pirs kir, jê re got:

“-Bila dêya min û bavê min bi qurbana Te bin, ji bo însanan tişta ku ji van bi xêrtir e, çi ye?” Mezinê me Pêğemberê Xuda devê xwe şanî da û got:

“-*Heke mirov xêrê nabêje, bila huş bibe*.”

Mûaz pirs kir, got:

“-Ma emê ji bo tiştên ku dibêjin hesab wê ji me were pirskirin?”

Vêca Resûlûllah wisan hêdîka destê xwe li ser çokên Hezretê Mûaz dan û ev jê re gotin:

*“-Hey Mûaz! Xuda xêra xwe bide te! Ma ji tişta ku wan bi zimanên xwe gotine pê ve çi tiştê din wan ser deverûkî ber bi cehennemê ve dikişkişîne? Kî, îmanê bi Xuda û roja axretê bîne, bila peyva bi xêr bibêje, yan jî bila huş bibe, bila peyva bi zirar nebêje! Hûn peyva bi xêr bibêjin û bi kar derkevin; hûn bi gotina peyva bi zirar nagihîjin rehetî û hizûrê.”* [112]

Ji lewma divê mûmîn hîç ji bîra neke ku peyvên wî gotine û yên ku ew dibêje jî hemû ji terefê kamerayên îlahî ve tim û daîm her têne qeydkirin. Çawa Xuda di ayeta pîroz de wiha dibêje:

112. Hakim, IV, 319/7774.

"**Însan çi bibêje her li cem wî melaîketek heye ku çavdêrîyê lê bike û wê binivîse**." [113]

Heke li vê dinyayê ji bo her peyva me hesab ji me neyê pirsîn jî, li axretê hesab her dê ji me were pirskirin. Ji lewma şert e ku çawa divê em li luqme û parîyên ku dikevin devê xwe diqqet bikin, aynî wisan divê em li peyvên ku ji devê me derdikevin jî diqqet bikin. Dîsa bi vê hikmetê di Qur'ana Pîroz de giringîyeke mezin ji edeba peyv-gotinê re hatiye dayîn. Wate ehemmîyet bi vê xusûsê hatiye dayîn; emê çawa biaxivin û emê çawa neaxivin.

## QUR'AN, JI ME USLÛBEKE AXAFTINÊ YA ÇAWA DIXWAZE?

Qur'ana Pîroz di serî de me ji bo bikaranîna îfadeyên sipehî û birêkûpêk bang dike. Li însanan ferman dike, ji wan re dibêje; "**qewlê hesen**" [114] bibêjin, wate peyvên sipehîtirîn bibêjin.

Qur'an ji me re dibêje: Ji dê-bavên xwe re "**of**" jî nebêje, lêbelê ji wan re « قَوْلاً كَرِيماً » (**qewlen kerîma**)[115] wate, peyvên pîroz bibêje.

Qur'ana Pîroz ji me re dibêje; heke te tiştek nebe tu bidî feqîr-fuqera, mûhtac û mehrûman, hema nebe jî ji wan re قَوْلاً مَيْسُوراً (qewlen meysûra)[116] bibêje. Wate ji wan re peyveke dilxweşker, gîyanrehetker û tesellîkar bibêje.

113. Qaf, 50/18.
114. Beqere, 2/83; Îsra, 17/53.
115. Îsra, 17/23.
116. Îsra, 17/28.

Qur'ana Pîroz ji me re dibêje; « قَوْلٌ مَعْرُوفٌ » (qewlun marûfun)[117] wate xebereke xweş çêtir e, ji dana sedeqeyeke ku însan wê bixe minnet, dilê yekî biêşîne ku ew jî wê ecra wê sedeqê jî zayî bike.

Qur'ana Pîroz ji me re dibêje; « قَوْلاً مَعْرُوفاً » (qewlen marûfa) [118] wate ji wan mûhtac û sêwîyên ku wekî teyrê perşikestî îhtiyaca wan bi hîmayê heye, ji lêziman û ji belengazan re bi zimanekî şîrîn peyva sipehî û xweş bibêje.

Qur'ana Pîroz ji me re dibêje; « قَوْلاً مَعْرُوفاً » (qewlen marûfa)[119] wate ji wan kesên ku nexweşîya manewî di qelbê wan de heye, ji bo cih nedana tohmet, fitne, yan jî şaş fehmkirinê, ji wan re peyveke guncaw, mûnasib û di cihê wê de bibêjin.

Qur'ana Pîroz ji me re dibêje; « قَوْلاً لَيِّناً» (**qewlen leyyîna**) [120] wate ji bo nermkirina qelbê zaliman ji wan re peyveke nerm bibêjin. Ev ayet ji me re dibêje; di teblîğê de xîtaba dijwar û xeşîn tesîreke menfî hasil dike. Ji lewma ji me re dibêje; di teblîğê de zimanê şîrîn, rûyê devliken û bêyî nefret dan-kirin, uslûba axaftinê ya ku mizgînîyê dide û hezkirinê dide zêdekirin bikar bînin.

Qur'ana Pîroz ji me re dibêje; « قَوْلاً بَلِيغاً » (**qewlen belîğa**)[121] wate di esnaya teblîğê de peyveke tesîrkera ku di dilan de bandorê bike, bibêjin. Bi vî awayî Qur'ana Pîroz li me dide hînkirin; ji bo peyva me tesîrê bike û bigihîje dilan divê ew ji dilê me derkeve û were teleffuzkirin. Di rewşeke berevajî de ew îfadeyên ku bi serê zimên têne gotin di vî guhî re diçin û di wî guhî re derdikevin (ti feyda wan çênabe). Dîsa ew di bîra me tîne; çawa çîçekên ku li ber

117. Beqere, 2/263.
118. Nîsa, 4/5, 8.
119. Ehzab, 33/32.
120. Taha, 20/44.
121. Nîsa, 4/63.

tibaran (qaldirim-peyarê) bel dibin emrê wan kurt dibe, aynî wisan ew peyvên ku ji dil nayên jî tesîra wan wê ğayet emrkurt bin.

Ji bilî vê jî yek ji fermanên îlahî ev e; divê peyvên teblîğ û îrşadê ne peyvên besît û jirêzê bin; lêbelê divê peyvên wisan manedar, sipehî, hikmetdar, edebî û bi titîzî bêne bijardin ku ew tesîrê li rûh bikin û mûxatebî îqna bikin. Çawa Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"(Resûlê min!) **Tu, bi hikmet û şîretên sipehî** (mirovan) **ji bo rêya Rebbê xwe bang bike.**" [122]

Rûh ji hikmetê re meclûb in. Peyvên bihikmet xureka rûhî ne.

**Hezretê Elî** (Xuda jê razî be) ferman dike, dibêje:

"*Bêhna rûhê xwe bi peyv û bizavên bihikmet û binukte (tinaz) vekin. Lewra çawa beden dikerixin aynî wisan rûh jî dikerixin.*"

Wate, divê zimanê mûmînî, bibe kehnîyeke hikmetê ku ew heqîqetên bedî yên îlahî û sipehîtahîyên îlahî raêxin meydanê.

Qur'ana Pîroz ji me re dibêje « قَوْلاً سَدِيداً » (**qewlen sedîda**) [123] peyva rast û durust bibêjin. Wate, heke hûn dixwazin bibînin ku wa ye, bi we re mûamele, bi rastî, edalet û heqqanîyetê tê kirin, heke hûn dixwazin karên xwe û halên xwe rast bikin û Xuda jî we efû bike, divê hûn jî di her xusûsê de rast, semîmî, adil û heqnas bin.

Çawa peyv-rast bûn û hîç ti kes nexapandin, ji bo mislimantîya me şertekî wisan giring e ku nebe-nabê ye. Misliman, çendan tehl be jî, heke li dijî wî bi xwe be jî rastîyê dibêje. Çawa **Resûlê Xuda** di tinazên xwe de jî îfadeyên li derveyî heqîqetê bikar neanîne. Lewra hesta rastgotinîya wî ew xistibû riqqeteke qelbî ya wisan ku dema jinekê zarokê xwe jî bang kir, bibêje:

122. Nehl, 16/125.
123. Nîsa, 4/9; Ehzab, 33/70.

"-*Ka were binêre, ezê çi bidim te*!" ew derhal li wê jinê vegerîya, jê pirs kir; tu dê çi bidiyê, dema wê jinê jê re got; ezê çend xurmeyan bidimê, jê re got:

"-*Heke te tiştek nedaba wî, gunehê derewekê ji te re dihate nivîsîn*." [124]

Rêbera me ya hîdayetê Qur'ana Pîroz bi çendîn ayetên xwe me mûmînan ji bo axaftina bi îfadeyên rast, bi rêkûpêk, mûnasib, nerm û şîrîn bang dike û me ji dijberên van jî dide dûrkirin.

## AXAFTINÊN KU QUR'ANÊ MEN KIRINE

Qur'ana Pîroz îfadeyên derveyî heqîqetê yên ehlê şirk û kufrê bi **peyva webalê wê zehf mezin** [125] **peyva pûç** [126] û **peyva ji nakokîyê tije** [127] dide zanîn. Qur'ana Pîroz bi awayekî şêwetund di serî de jî tiştên wekî şirk, nîfaq û kufrê ku li dijî Xuda têne îrtîkabkirin û her cure **peyva derew**[128] qedeğe dike. Wek beşek ji vê tehdîda Qur'ana Pîroz ji bo mirovên ku şahidîya derew dikin, bi rastî zehf mezin e.

Cenabê Heq, **peyvên xirab**[129] û bizavên mekroh ji îstisnayeke wan pê ve, ew jî heke însanê mezlûm wan li ber daderês îfade bike mazûr tê dîtin. Lêbelê wekî din li meydanan bi eşkerehî gotina wan û îfşakirina wan ji her kesî re çi elaqa wî pê re hebe, çi jî elaqa wî pê re nebe, hatiye qedeğekirin. Lewra vegotina hinek mekrohîyan û gihandina wan ji bo dîgeran dibe sebebê hînbûna wan û gelem-

124. Ebûdawud, Edeb, 80/4991; Ehmed, III, 447.
125. Îsra, 17/40.
126. Re'ad, 13/33.
127. Zarîyat, 51/8.
128. Hec, 22/30.
129. Nîsa, 4/148.

perbûna wan. Axaftinên ji cureyên bêedebî û bêheyatî jî wiha ne. Mezinê me Pêğember di hedîsa şerîf de dibêje:

“*Mûstehcen xeber-dan, beşek ji mûnafiqîtîyê ye*.” [130]

Hem jî lazim e mirov xwe ji peyvên xirab biparêze da ku zimanê mirovî hînî îfadeyên xirab nebe. Ew qisse, vê çi xweş îzah dike:

**Hezretê Îsa** di rê de li berazekî rast tê. Jê re dibêje: “*Bi selametî ji rê derkeve!*” Mirovên pê re jê dipirsin, jê re dibêjin:

“-*Ma tu vê ji berazî re dibêjî*?” (Ew jî peyva beraz nabêje, dema ew bi vî heywanî re jî diaxive, ji bo ji wan re bide zanîn ku ew xwe ji xeberdana hişk diparêze, wiha bersiva wan dide:

“-*Ez ditirsim ku zimanê min hînî gotina peyvên mekroh bibe!*” [131]

Di zimanê de ji bo peyvên ku çi lazim be, çi ne lazim e hema zehf têne dubarekirin “belesan” tê gotin ku ev jî lawazîyeke axaftinê ye. Vêca heke peyveke wiha, ne layiq be, yan jî îfade hişk be, mehzûra vê hê mezintir e. Ev xuyê xirab ê ku wê însanên salih biêşîne û wan ji dora mirovî bide dûrkirin, bi ti awayan li mûmînan nayê, ji wan re ew ne layiq e.

Çawa Mezinê me Pêğember di hedîsa şerîf de dibêje:

“*Li cem Xuda însanê ji hemû însanan xirabtir ev kes e ku ji ber xirab-bûna devê wî însanan çûna cem wî û hevdîtina pê re terk kirine*.” [132]

Dîsa **Resûlûllah** di esnaya axaftinê de bikaranîna peyvên dûre-deb û hişk naxwaze, tewsîye dikir ku naxwe heke peyvên cuda yên

130. Tirmizî, Kîtabû’l-Birr wes-Sile, 80.
131. Mûwetta, Kelam, 4.
132. Buxarî, Edeb, 48.

ku aynî maneyê îfade dikin hebin, ji bo edeb û nezaketê kîjan peyv mûnasib bin, bila ew werin tercîhkirin.

Terzekî axaftina ku Qur'anê qedeğe kiriye jî ev e; xemilandin û pûl-lêkirina peyvê ji bo xapandina însana ye û bikaranîna **peyvên avzêrkirî** [133] û bi mûbaleğa bi mebesta ji hebûna wî cudatir şanîdana tiştekî ye. Divê mûmîn li peyvên xwe diqqet bike da ku ew bi hêsanî werin fehmkirin. Divê neyê jibîrkirin ku ji axaftinê meqsed, bi awayekî zelal îfadekirina merama mirovî ye. Tesennû (çê) kirin, bi awayekî ğeyrê tebîî, bi peyvên xemilandî edebîyat rijandin û xwe li zanatîyê danîn, di nêrîna mûxateban de îtîmad û îtîbarê xirab dike. Ew vê fikrê diwelidîne ku ew sade ji bo axaftinê, wiha tevdigere. Çawa **Mezinê me Pêğember** xeber daye ku axaftinên wiha ğezeba îlahî celb dike û di carekê de jî wiha gotiye:

"*Kî ji bo bi alîyê xwe ve kişandina qelbê mirovan bikaranîna kelamê xwe (bi şetefat) hîn bibe (her wekî ku însanan bêzar bike wisan) peyva xwe ji pêwîstîyê zêdetir dirêj bike, Xuda roja qiyametê, ne ferzê, ne jî nafîle'yê, ti îbadetî ji wî qebûl nake!*" [134]

Ji lewma divê mirov peyva xwe zêde dirêj neke û wê bi awayê hindik û rindik îfade bike. Divê îfadeyên me wekî aveke berraq zelal, sade, lêbelê rewan bin. Lewra bi îfadeya **Hezretê Mewlana**;

"*Peyva dirêj, ewê ku nikare meqsûda xwe îfade bike, wê dibêje.*"

Peyv dirêj kirin, bi ser de çûn û dubarekirina aynî meselê, hem mûxatebî reht û dilteng dike, hem jî ew tê vê maneyê ku mirov mûxatebê xwe netêgiha dijmêre. Di edebîyatê de ji vê re "**îtnab**" wate gevezetî-kirina di peyvê de ye.

---

133. Enam, 6/112.
134. Ebûdawud, Edeb, 86/5006.

Ji bo mirov sipehî biaxive şert e ku pêşî mirov guhdarîkirinê jî hîn bibe. Cenabê heq, ji însanî re du guh û zimanek bexş kirine da ku ew zehf guhdarî bike û hindik biaxive. Li cihê ne pêwîst pirr xeberdan, însanî ji çavan dixe. Hem jî divê mirov nekeve nîqaşên pûç ên dûv-dirêj û bi vî awayî xwe ji îsrafkirina wextê xwe biparêze.

**Îmam Ewzeî** (w. 157) dibêje:

"*Dema Xuda ji civakekê re şer mûrad bike, ji wan re derîyê cîdala (nîqaşa) nepêwîst vedike û wan ji amel asteng dike.*"

Ji lewma xirecirên nepêwîst û laqirdîyên pûç jî ji îsrafkirina axaftinê ne. Resûlê Ekrem dibêje:

"*Axaftina însanî ne di lehê wî de, lê di eleyhê wî de ne. Lêbelê axaftinên wî yên ku ji bo şîretkirina xêrê û menkirina xirabîyê bin, li derveyî wê ne.*" [135]

"*Ya Hefsa! Xwe ji axaftina zehf biparêze. Tiştê ku tê gotin heke ne zikrûllah be, dilî dikuje. Lêbelê zikrê Xuda zehf bike. Ha ev, dilî vedijîne.*" [136]

"*.. Axaftina tiştên bi xêr ji sikûtê çêtir e; sikût jî ji axaftina tiştên xirab çêtir e.*" [137]

Ji lewma divê mirov eyar bike ku wê kengê û çi qederê biaxive.

**Şêx Sadî yê Şîrazî** çi xweş dibêje:

"*Du tişt hene sivikatîya aqilî şanî didin: Li cihê axaftinê huşbûn, li cihê huşbûnê jî axaftin.*"

Ji bilî vê jî îcab dike ku mirov tonê dengê xwe bi awayekî nazik li gorî rewşa mûxatebê xwe eyar bike. Bi dengekî bilind û bed,

135. Îbnûmace, Fîten, 64.
136. Elî el-Mûtteqî, hijmar: 1896.
137. Hakim, III, 343; Beyheqî, Şûeb, 256/4993.

axaftina hinek tiştên hov û hişk ku bi guhan ve hilkişin, yek ji wan axaftina ye ku Qur'ana Pîroz ew qedeğe kiriye.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Di rêveçûna xwe de tebîî bibe, dengê xwe nizm bike. Ji bîr neke ku dengê ji hemû dengan mekrohtir dengê kerê ye**." [138]

Çawa hinek sehabî li hizûra Mezinê me Pêğember bi dengê bilind axivîn ji lewma ev îxtara (pêşagahîya) îlahî hat:

"**Gelî yên ku îman anîne! Dengê xwe bi ser dengê Pêğember de bilind nekin! Wekî ku hûn bi dengê bilind hev bang dikin, wisan bi dengê bilind bi Pêğember re neaxivin; heke na, bêyî ku haya we jê hebe wê amelên we pûç bibin**." [139]

Ev jî dide zanîn ku divê mirov edeba xwe biparêze û li hizûra mirovên mezin û mirovên ji bo hurmetê şayan dengê xwe nizm bike.

Ji bilî vê îcab dike ku mirov zimanê xwe bi mekrohîyên wekî gotegotê, ğeybet, îftîra û zena xirab nelewitîne. Ev afetên zimanî ne û xirab-bûna qelbî şanî didin.

**Welhasil,** mûmînekî ku exlaqê Qur'anê ji xwe re kiribe exlaq, divê wekî çîçekeke belbûyî be, divê bi sipehîtîya xwe, bi rayîha'ya xweşa xwe rûh miz bide, bifirkîne. Divê her peyva wî ji îfadeyên wekî pirlanta bin, ji rûh re xurek bin. Divê ew bevkenî û tebessumê ji sîmayê xwe kêm neke û ew bi zimanê şîrînê xwe tim û daîm rehmê tewzî (belav) bike. Divê ew bi şexsîyeta xwe û bi tevgerên xwe di qiwama "ehsen, ecmel û ekmel" de be.

**Ehsen**, wate divê her karê wî, yê sipehîtir be û ew sipehîtahîyê li ser derdorên xwe tewzî bike.

---

138. Luqman, 31/19.
139. Hucûrat, 49/2.

**Ecmel**, wate divê dilê wî di zarafet û letafeteke wisan de be ku hizûr û keyfxweşîyê bide.

**Ekmel**, wate divê ew zehf gihayî û mûkemmeltir be.

Her kar û berhema mûmînên wiha îdeal, wê sipehîtîya Îslamê, îhtîşama wê, estetîka wê, hizûra wê û rûkenîya wê bide xuyakirin.

Li gorî di Hilye’yên şerîf de hatiye guhastin, di rûyê **Mezinê me Pêğember** de nûra melahetê, di peyvên wî de selaset, di hereketên wî de letafet, di lîsanê wî de telaqet, di kelîmeyên wî de fesahet, di daxuyanîyên wî de jî fewqelade belağet hebû. Axaftina wî heta tu bibêjî bes şîrîn û dilxweşker bû, kelîmeyên wî ne kêm, ne jî zêde bûn. Ew peyv bi peyv diaxivî, her hevokeke wî ji terefê guhdaran ve bi rehetî dihat fehmkirin. Ew li ser hev bilez nediaxivî ku peyvên xwe li pey hev rêz bike.

**Welhasil,** Ew ji hemû mirovan fesîhtir bû, axaftina wî ji ya her kesî wecîz û bi hikmettir bû, wî ji her kesî bêhtir peyvên manedar digotin û wî ji her kesî bêhtir merama xwe bi awayê rasttirîn îfade dikir.

**Ebû Qursafe** wiha dibêje:

“Ez, dêya min û xaleta min çûbûne cem Mezinê me Resûlûllah û bey‘et dabûyê. Dema em ji hizûra ‘alî-ya wî derketin, dêya min û xaleta min ji min re gotin:

"-Kurikê min, me ti kesî wekî vî zatî hîç nedîtiye! Em ti kesî ku rûyê wî ji yê vî jî sipehîtir be, cilên wî ji yê vî temîztir bin û peyvên wî ji yên vî nermtir bin, nedîtine. Her wekî ku ji devê mûbarekê wî nûr dipijiqîn.»" [140]

140. Heysemî, VIII, 279-280.

**Rebbê me, me bendeyên xwe ji bo lîsanê rehmê yê Mezinê me yê ku ji aleman re wek rehm hatiye şandin, aşna û çavnas bike! Ji me re mûyesser û bi nesîb bike ku em exlaqê Qur’anê ji xwe re bikin exlaq û em karibin hal û hereketên xwe bi endazên Qur’anê tenzîm bikin!**

**Amîn..**



***"...Wekî ku Xuda îhsan li te kiriye, tu jî (li însanan) îhsanê bike.."*** [141]

***Sadî-yê Şîrazî dibêje:***

***"Dostên Heq kirrîn-firotina xwe ji dikanên ku ti kes naçe wan, dikin."***

# *Comerdî û Înfaq*

*Divê mûmîn, wekî bahora ku (hînik hînik) tê şefqetkar, wekî baranên ku dibarin jî comerd be, ew her an û gavê hizûrê ji derdorên xwe re bexş bike û li rizaya Heq bigere.*

*Ji lewma dostên Heq jî wekî mehtava şeva tarî bi nûr, hessas, reqîq, dîgerkam, bi merhemet û ji heyecana comerd û înfaqê tije ne. Ew di comerdîyê de dişibihin çemên bi coş û xuroş ku di dirêjahîya salên dûv-dirêj de hizûrê ji bo hezar û yek zindîyan; însanan, heywanan, daran, çûkan, gulan û simbilan bexş dikin, dikişin û diçin.*

---

141. Qeses, 28/77.

# COMERDÎ û ÎNFAQ

Fêkîyê pêşînê îmanê merhemet e. Dîyartirîn elametê merhemetê û tekûztirîn tezahura wê jî “**înfaq**” e. Înfaq; weqifkirina mal û can ji bo Xuda ye. Pêğember û alim, arif û welîyên ku warisên wan e, zirweyên fezîleta beşerîyetê ne, heyata wan ji menqîbeyên bêjimar ên merhemet û înfaqê tije ne.

## DI XÊRÊ DE PÊŞBIRKÊ BIKIN...

Rojekê **Mezinê me Pêğember** nimêja sibehê kir, piştre berê xwe da sehabîyên xwe, ji wan pirs kir, ji wan re got:

“*-Di nav we de ti kes ê bi rojî heye?*”

Hezretê Ûmer jê re got:

“-Ya Resûlellah! Doh bi şev rojî nehate aqilê min, ji lewma ez vêga ne bi rojî me.”

Hezretê Ebûbekr jî got:

“-Ez doh bi şev rojîyê fikirîm û bi rojî li min bû sibeh.”

Resûlê Ekrem dîsa pirs kir, got:

“*-Îro ti kes ji we çûye serdana nexweşekî?*”

Hezretê Ûmer got:

“-Ya Resûlellah! Me hênûka nimêja sibehê kir û em hê ji cihê xwe nerabûne, vêca emê çawa karibin herin serdana nexweşekî?”

Hezretê Ebûbekr jî got:

“-Min bihîst ku birayê min Ebdûrrehman bin Ewf reht bûye, dema ez dihatim mizgeftê, min çû dîqî (serdana kurt) wî kir ji bo ez binêrim ka rewşa wî çawa bûye.”

Dîsa Mezinê me Fexrê Kaînatê pirs kir, got:

“-*Îro ti kesî ji we zikê belengazekî têr kiriye?*”

Hezretê Ûmer got:

“-Ya Resûlellah! Me hênûka nimêja sibehê kir û em hê ji cihê xwe nerabûne.”

Hezretê Ebûbekr jî got:

“-Dema ez dihatim mizgeftê, min kesek dît îhtiyaca xwe erz dikir. Qetek nanê cehî di destê kurê min Ebdûrrehman de bû, min ew ji destê wî deranî û da wî xizanî.”

Vêca Resûlê Xuda got:

“-*(Ey Ebûbekr!) Ez mizgînîya cennetê didim te*.”

Hezretê Ûmer ji dilê xwe kesereke kûr kişand û got: “Ax cennet!” Mezinê me peyveke dilxweşker ji wî re jî got:

“-*Xuda li Ûmerî were rehmê, Xuda li Ûmerî were rehmê! Ew kengê bixwaze xêrekê bike, Ebûbekr her dide pêşîya wî, jê dibûre*.” [142]

142. Heysemî, III, 163-164. Ji bilî vê jî li Ebûdawud, Zekat, 36/1670; Hakim, I, 571/1501.

Mezintirîn dersa ku divê em ji vê hedîsê bigrin, divê di her an û gavê de em li amelekî bigerin ku ew ji bo riza'ya Xuda bibe wesîle. Lewra Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Dema tu karekî** (xêrê) **xilas bikî derhal dest bi yekî** (kar û îbadetekî) **din bike û bes berê xwe bide Rebbê xwe**." [143]

Dîsa Rebbê me di bara evdên salih ên xwe yên ku ji wan razî dibe de di ayeta pîroz de wiha dibêje:

"...**Ew di xêrê de bi hev re pêşbazîyê dikin**.." [144] Ha şert e ku ev pêşbazî-kirina di xêrê de ji bo mûmînî bibe tebîetê eslî. Divê mûmîn, wekî bahora ku (hînik hînik) tê şefqetkar, wekî baranên ku dibarin jî comerd be, ew her an û gavê hizûrê ji derdorên xwe re bexş bike û li rizaya Heq bigere.

Ji lewma dostên Heq di comerdîyê de dişibihin çemên bi coş û xuroş ku di dirêjahîya salên dûv-dirêj de hizûrê ji bo însanan, heywanan, daran, çûkan, gulan û simbilan bexş dikin, dikişin û diçin. Înfaqa rastîn jî ev e; mirov bi dilekî ji îxlas, merhemet, şefqet û dîgerkamîyê tije, berê xwe bide dilên mehzûn û meğmûm û wiha li riza'ya Xuda bigere. Mirov ji bo telafîkirina mehrûmîyeta dîgeran bi hemû îmkanên xwe bi arîkarîya hewcedaran ve bibeze, bi hewara wan ve here.

Rebbê me, ew înfaqa ku îcabeke siriştîtirîna şerefa însanîyetê ye, îfadeyeke esîltirîna wijdanên selîm ên ku bi merhemetê hatine stran e, kiriye yek ji mûhîmtirîn îbadetên îctîmaî. Bêşiwar ev, yek ji lutfên mûstesna'ya wî ye. Dîsa Rebbê me, qismekî cuzî ji nîmetên xwe yên ku ji evdên xwe re lutf kirine, wek îfadeyeke şukrê dîsa îrad kiriye ku ew jê re werin teqdîmkirin, di mûqabilê vê de jî înfaq;

143. Înşîrah, 94/7-8.
144. Alî Îmran, 3/114.

ji bo gunehan kiriye wesîla kefaretê û ew ji bo seadeta ebedî jî kiriye derîyê mûhîmtirînê ecr û mûkafatê..

## XESLETA KU DÎN BILIND DIKE: COMERDÎ

Tekane sermayê dilî yê ji bo îfakirina (bicihkirina) îbadetê înfaqê pêwîst, "**comerdî**" ye. Ew bexçeyên dilî yên ku tuxmê comerdîyê têde nehatibe avêtin, ji wan çavnêrîkirina hasilbûna fêkîyê înfaqê beyhûde ye.

Di hedîsa şerîf de îşaret bi wesîlebûna comerdîyê ji bo mehebbet û nêzîkbûna îlahî hatiye dayîn û wiha hatiye gotin:

"*Ellah Teala comerd e, xwediyê îhsanê ye; ji comerdî û exlaqê bilind hez dike..*" [145]

Ew comerdîya ku lezzeta îmanê ye, hem hezkirina xelkê, hem jî hezkirina Heq celb dike. Çawa di hedîsa qudsî de hatiye gotin:

*"Ev dîn (yanî Îslam), ew dîn e ku min ew ji bo zatê xwe bijardiye û pê razî bûme. Bes comerdî û exlaqê xweş, jê re layiq e. Heta ku hûn wek misliman bijîn, wî bi van herdu xesletan bilind bikin!"* [146]

Comerdî, netîca bawerîya kamila bi Xuda û axretê ye. **Hezretê Elî** vê çi xweş îfade dike, dibêje:

"*Îman wekî darekê ye: Koka wê yeqîn e, çiqilê wê teqwa ye, nûra wê heya ye, fêkîye wê comerdî ye.*"

**Şêx Sadî-yê Şîrazî** jî dibêje:

145. Suyûtî, Camîus-Seğîr, I, 60.
146. Heysemî, VIII, 20; Elî el-Mûtteqî, Kenzû'l-Ummal, VI, 392.

“Kesê comerd, wekî dara ku fêkî dide. Însanê ne comerd jî wekî êzingê li çîyê ye.” Wî bi vê gotina xwe îşaret pê daye ku mehrûmîyeta ji vê xesleta sipehî, ti ferqa wê ji qoçikekî şewatê nîn e.

## DU ÎLLETÊN MEZIN: ÎSRAF Û NEMERDÎ

Îsraf, zêde li xwe xerckirin e; nemerdî jî ji tixûbê normal zêdetir ji xwe re komkirin e. Herdu jî ezperestî û xwedbînî ye. Cenabê Heq, evdînîyeke bi vî awayî red dike. Xuda di ayeta pîroz de wiha dibêje:

“**Destê xwe wekî bi stûyê xwe ve girêdayî nemerd nebe! Destê xwe bi temamî jî veneke û îsrafê neke!**..” [147]

“**Ew, dema didin îsrafê nakin; nemerdîyê jî nakin; di navbera herduyan rêyekê digrin**.” [148]

Dana heqê serwetê ev e; mirov wê li cihên ku hatine qedeğekirin xerc neke û ev jî bi xwe dûrkirina ji herdu tehlûkên mezin “**îsraf**” û “**nemerdî**”yê mûmkin e. Afeta zengînîyê; hirs, temakarî û nemerdî ye. Çareya vê jî “**comerdî**” ye.

Hezretê **Îmam Ğezalî** comerdî, wek rewşa hevkêşîya navbera îsraf û nemerdîyê tarîf kiriye.

Li rexê din, afeta comerdîyê jî “îsraf” e. Wate, dema mirov dibêje, bila ez comerd bim, bêpîvan bi destbelavî xerckirin û serfkirina nîmetê ji bo cihên nepêwîst jî îsraf e.

Di behsa înfaqê de divê mirov li vê jî miqate be ku îsraf, ne zehf xerckirin e. Xerckirina nepêwîst û ne di cihê wê de ye vêca çi hindik be, çi jî gellek be ew her îsraf e. Di aynî zemanî de xerckirina

147. Îsra, 17/29.
148. Furqan, 25/67.

di cihê wê de û ya ku digihîje emanca xwe, çendîn zehf be jî ne îsraf e, tam berevajî vê ew ji bo teqdîrê (qîmet-pêdanê) şayan dibe.. Çawa ev peyva ku dibêje: “Di îsrafê de xêr, di xêrê de jî îsraf nîn e.” vê heqîqetê îfade dike.

Sipehîtirîn delîl ji bo ku “dana zehf” di oğira hedefeke bi xêr de îsraf nayê jimartin, înfaqa Hezretê Ebûbekr e. Lewra wî gellek caran temamê malê xwe ji Mezinê me Resûlûllah re anîye û ew xerc kiriye.

Li rexê din nemerdî jî ne dana tebabeke (miqdarekî) hindik e, lêbelê nedana wê rêjeyê ye ku divê li gorî îmkanan were dayîn. Lewra herkes bi qasî derfetên xwe berpirs e.

**Şêx Sadî** vê heqîqetê çi xweş îzah dike:

“*Heq Teala, derîyê qencîyê li ber ti kesî negirtiye. Vê zanibe ku qencîya her kesî bi qasî şîyana wî bi xwe ye. Heke zengînek ji xezîna xwe qentarek zêr bide, ew bi qasî ku feqîrek ji keda destê xwe qiratekê bide, nabe. Lingê kulehî, ji mîroyê re barekî giran e*.”

Înfaqa pîyanek ava ku di Herba Yermûkê de sê şehîdan di nefesa dawîya xwe de bi fedakarîyeke mezin ji hev re dewr kiribûn lêbelê di encamê de ew li meydanê mabû, dibe ku ew ji gellek înfaqên ku mezin tên jimartin jî, bûrîbe. Lewra li wir ya mûhîm ne pîyanek av e, lêbelê îhtîşama zengînîya dilî ye ku ew li wir hatiye raxistin.

Bi vê nêrînê heke hindik dayîn nemerdî bûya, comerdî jî dibû îmtîyazeke zengînan tenê. Haleveku zengînî yan jî feqîrî teqdîreke îlahî ye ku li vê dinyayê sirrên îmtîhanê bi xwe re tîne. Zengînbûna însanî, yan jî feqîrbûna wî bi îradeya wî bi xwe re ne bend e. Ji lewma comerdî yan jî nemerdî, ne mesela mal û milk û serwetê ye, lêbelê mesela dilî ye.

Wate mûmînekî îmkan teng jî dibe ku comerd be û divê necomerd be jî. Îmkanên me jî di her hal û karî de lazim dike ku em evdekî comerd bin. Lewra comerdî, yan jî nemerdî, ne bi îmkanên me ve bend e; gelo em karin çi qeder ji wan înfaq bikin; lêbelê bi vê ve bend e, gelo em karin çendan ji wan înfaq bikin.

Çawa Mezinê her mûmîn; çi feqîr be, çi zengîn be ji bo înfaqê teşwîq dikir û kiriye; ji bo wî yê ku ji xurmekekê pê ve tiştekî wî nebû, gotiye; "*heke bi nîv xurmekekê be jî xwe ji agirê cehennemê biparêze, heke te ew jî nebe, xwe bi peyveke sipehî û xweş jê biparêze..*" [149]

Di vê xusûsê de çend nimûne ji telqîn û teşwîqên nebewî wiha ne:

"*Ya Aîşe! Heke bi nîv xurmekekê be jî feqîrî bi şûn de destevala nevegerîne.*" [150]

"*Di rûyê bira-dînê xwe de tebessum-kirina te sedeqe ye.*" [151]

Dîsa Mezinê me Pêğember di hevdîtineke xwe de bi Ebûzer re ku ew yek ji feqîrên sehabîyan bûye, di mahîyeta îşaret pêdana ku feqîr li ber comerdîyê ne asteng de, jê re gotiye:

"*Dema tu şorbê bipijînî ava wê zehf bike. Piştre cîranên xwe di ber çavan re derbas bike û tu kîjanî ji wan (ji bo sedeqe danê) lazim bibînî (hinekê ji wê) bi awayekî sipehî jê re îkram bike!.*" [152]

149. Buxarî, Edeb, 34.
150. Tirmizî, Zuhd, 37.
151. Tirmizî, Birr, 36.
152. Mûslim, Birr, 143.

## DERMANÊ QESWETA QELBÎ: COMERDÎ Û ÎNFAQ

Ji bo her îbadetekî sipehîtî, fezîlet û qezencên manewî yên wî cipûcuda hene ku ew bi dil dane qezenckirin. Di xilasbûna însanî ji vî wesfê xam û bûna wî bi mûmînekî kamil de ehemmîyeteke mezina van qezencên manewî heye.

**Ûmer bin Ebdûlezîz** -rehmetûllahî eleyh- dibêje:

"*Nimêj, te digihîne nîvê rê; rojî te digihîne tam derîyê Melik. Sedeqe jî te dibe hizûra Melik.*"

Heke maneya ku peyva "**Înfaq**"ê hildigre baş were tehlîl-kirin, wê were dîtin ku hikmeteke vî îbadetî jî ev e; rûh, şexsîyet û karektêrê însanî ji esareta maddîyatê xilas bike û manewîyatê li ser maddîyatê serwer û hakim bike. Ji vê hêla xwe ve di nav îbadetan de belkû mezintirîn feyda ku înfaq ji rûh re temîn dike "**hizûra wijdanî**" ye.

**Elî Îsfehanî** -rehmetûllahî eleyh- vê heqîqetê çi xweş îfade dike:

"*.. Ez li efîyet û bêguneh-bûnê gerîyam; min ew di zuhdê de, wate min bi tirsa ketina tiştên bi şubhe ew di terkkirina pirranîya mûbahan de dît. Ez li hesabê hêsan gerîyam, min ew di sikûtê de dît. Ez li rehetî û hizûrê gerîyam; min ew di înfaq-kirina comerdane de dît.*"

Lewra her mûmîn ji hawîrdora xwe berpirs e. Ew nikare li hemberî feryad û hewarên hewcedar û zulmbaran bêgane bimîne. Dîsa ew, wekî mehtava şeva tarî bi nûr, hessas, reqîq, dîgerkam, bi merhemet û ji heyecana comerd û înfaqê tije ne.

Cenabê Heq, di temînkirina rizq de mexlûqat ji hev re kirine wesîle. Ji lewma li ber çavan girtina mûhtacan û ji wan îhsanên ku Ellah Teala li me evdên xwe kirine parek ji wan re veqetandin,

fezîleteke mezin û lutfeke îlahî ye. Heta mûmîn ji bo feryadên mûhtacan nebe tesellî, rûhê wî jî tesellî nabe.

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

"*Vê baş zanibe ku windakirina ji bedenê, ji mal, ji milk û li zîyanê ketin feydê dide rûh; wî ji webalî xilas dike. Mal, bi danê, bi înfaqkirinê, di zahirê xwe de ji destan derdikeve diçe emma, bi sedan heyatên manewî têne dilê yê ku ew daye!*"

Serweta dinyayê; divê ew were qezenckirin ji bo mirov karibe bi awayê ku ji nêzîktirên xwe destpê bike, wisan arîkarîya nekaran, bêkesan û ğerîbên di civakê de bike û pê bigihîje hizûra wijdanî û seadeta axretê. Heke di qezencê de nîyet ev be, ğela, qeswet, buhran û diltengîyên ku endîşeyên dinyewî wan di dilan de tînin meydanê cihê xwe ji hizûreke şîrîn û halê sikûnetê re dihêlin.

Di roja me de yek ji nexweşîyên mezintirîn hişkîtîya qelbî ye, de werin em dermanê wê jî ji Mezinê xwe Resûlê Ekrem guhdarî bikin:

"*Heke tu bixwazî qelbê te nerm bibe, xwarinê bide yê feqîr û serê yê sêwîyî miz bide!..*" [153]

**Hezretê Mewlana** jî her wekî di mahîyeta şerha vê hedîsê de wiha dibêje:

"*Ew dilên ku di nav feqr û zerûretê de dixeniqin, dişibihin maleke tije dûman. Tu, li derdên wan guhdarî bike û bi vî awayî ji bo wê mala bi dûman pencerekekê veke da ku dûmana wê têde were kişandin, qelbê te tenik bibe û rûhê te jî zirav bibe.*"

Ha ew rûhên bi hizûr, ên ku înfaqên comerdane ew tenik kirine û kamil kirine, ew bi keyfxweşî mûşahede dikin ku înfaqên wan

153. Ehmed bin Henbel, Mûsned, II, 263.

kirine ji bo mûhafeza îlahî jî dibin wesîle. Ji bo vê jî ew ji dil û can berê xwe didin ser înfaqê..

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

“*Nimêja ku tu eda dikî şivantîyê li te dike; te ji xirabîyan, ji guran xilas dike! Zekata ku tu didî, pasevanîyê li kîsikê te dike, wî diparêze! Zêr, bi dana zekatê hîç kêm nabe; tam berevajî vê ew pê zêde dibe, pirrtir dibe!.*”

Bi rastî jî malê ku tê înfaqkirin kêm nabe, winda nabe. Tam berevajî vê bi qasî îxlasa di înfaqê de bereket dikeve navê. Hezretê Ebûbekr malê xwe hemû înfaq dikir, digel ku ji hêla maddî ve ew çendîn caran dihate nuqta xilasbûnê jî bi lutfa Rebbê me, ew dubare dubare dibû xwedî serwet. Lewra ew malê ku di rêya Xuda de tê înfaqkirin aynî wekî dareke ku tê kesaxkirin, zindîtir, berhemdartir û bi berekettir dibe.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Halê mirovên ku malê xwe di rêya Xuda de xerc dikin wekî halê libekê ye ku heft simbilan şîn dike û di her simbileke wê de jî sed lib hene. Xuda kê bixwaze qat bi qat didiyê. Xuda, îhsana wî zehf e û ew bi heqê zanînê dizane**.” [154]

Ew malê ku nayê înfaqkirin jî dişibihe wê ava ku bi sekna dirêj xirab dibe, bêhn pê dikeve û dilewite.

**Şêx Sadî-yê Şîrazî** çi xweş dibêje:

“*Zen neke ku tu yê bi pere komkirinê bilind bibî. Ava sekinî, zehf bêhn pê dikeve. Ji bo bexşkirinê bixebite. Ava ku dikişe, asîman arîkarîya wê dike. Baranê dibarîne, lehîyê dişîne û wê ziwa nake.*”

**Hezretê Mewlana** jî vê rastîyê wiha îfade dike:

154. Beqere, 2/261.

"*Ewê ku zad diçîne, pêşî kuwarê vala dike, lêbelê piştre hasîlata wî zehf zêde dibe. Ewê ku tovê xwe di kuwarê de dihêle jî, ew di dawîyê de wê ji mişkan re dike êm.*"

Ew zekat û sedeqên ku têne dayîn, malê ku bi şûn de mabe, temîz dikin. Ji bilî vê jî, ew li hemberî bela ji bo wî yê ku malê xwe daye dibin zirxekî manewî. Çawa di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Di sedeqe-danê de lezê bikin. Lewra bela nikare bikeve pêşîya sedeqê.*" [155]

Di Qur'ana Pîroz de di 200 cihan zêdetir de ji bo înfaqê û teşwîqkirina wê ferman heye. Ev jî netîceyeke merhemeta bêdawîya Rebbê me li evdên wî ye. Lewra Heq Teala, dema bang li evdên xwe dike ji bo ew îbadetê înfaqê îfa bikin, di esasê de evdên xwe bang dike ji bo ew bi awayekî layiq û temam ji feyz, bereket û hizûra manewî ya înfaqê îstîfade bikin.

## MALÊ JI ÎHTIYACA XWE ZÊDETIR BIDE

Dema qelb bi hezkirin ji Heq re ram dibin, rewşa zuhdê destpê dike. Mal û serwet ji çavan û dilan dikeve, lêbelê ji wî malî bes ew qîmetekî îfade dike, ew miqdarê ku ji nêzîkbûna Heq re bibe wesîle. Mûmînê ku li riza'ya Xuda digere, heyateke sade û bê rîyakarî dijî, ew zane bi miqdarê kîfayetê bes bike û li rêyên înfaqkirina wî digere.

Nesla sehabîyan a ku di keş û hewaya Qur'an û Sunnetê de gihabû jî di encama fethan de bi malê ğenîmetê yê ku bi ser Medînê de dişeqitî û dihat digel ku pê zengîn bûbûn jî meyla xwe nedan ser luks û seltenetê. Wan jîyîna mûtewazî û dekora sade ya xanîyên xwe neguherand. Wan ew malê ku bi ser wan de dişeqitî û dihat jî

155. Heysemî, Mecmaûz-Zewahid, III, 110.

bi awayê înfaqkirinê pê hizûra wijdanî û selteneta dilî, zengînîya heqîqî jîyan. Yek ji wan nexweşîyên bêeman ên zemanê me jî xerckirina zêde, goştxwerî, luks û rîyakarî ye, nesla sehabîyan ev terzê jîyanê nas nedikir. Lewra wan heyata xwe bi hesta "**menzila ku wê sibê nefsa me bigihîyê qebr e**" derbas dikir.

Hezretê **Îmam Malik** di nameyeke ku ji xelîfê zemanî re nivîsandî de wiha dibêje:

"*Hezretê Ûmer deh caran çû hecê. Bi zanîna min, jîyîna xwe daxist miqdarê kîfayetê di dirêjahîya hecê de bes 12 dînar xerc kirin. Wî koça xwe ne di bin çadirê de lêbelê li bin siha daran datanî. Meterê xwe yê avê bi stûyê xwe ve didaleqand û ew wilo dibir. Ew li nav çarçî û bazarê digerîya û hal û xatirê mirovên li wir pirs dikir.*" [156]

Dîsa Hezretê Ûmer îqtîsad li ber çavan digirt û di îhtiyacên xwe de bi miqdarê kîfayetê bes dikir û heca xwe îfa dikir. Bi vî awayî wî malê xwe yê ku ji ber mayî jî înfaq dikir. Lewra Cenabê Heq, endaza înfaqê wek "**malê ji îhtiyacê zêde**"[157] beyan kiriye. Li gorî vê endaza esğerî ya comerdîyê, dana malê ji îhtiyaca xwe zêdetir, malê jê re ne lazim e.

Di vê xusûsê de **Mezinê me Pêğember** wiha gotiye:

"*Ey kurê Adem! Heke tu malê ji îhtiyaca xwe zêdetir wek sedeqe bidî, ji bo te baş e; heke tu nedî xirab e. Ji ber ku tu bi qasî têra îhtiyaca xwe mal li cem xwe bihêlî tu nayî eybdarkirin. Qencîya xwe bi kirin ali mirovên ku debara wan di stûyê de ye, destpê bike. (ji bîr neke ku) destê danê ji destê standinê çêtir e.*" [158]

---

156. Qadî Îyaz, Tertîbû'l-Medarik, rûp. 271.
157. Beqere, 2/219.
158. Mûslim, Zekat, 97. Ji bilî vê jî li Tirmizî, Zuhdê, 32'yan binêrin.

Naxwe îcab dike ku mirov di xercîyên şexsî de ji miqdarê “**îhtiyac**”ê nebûre, miqdarê îhtiyacê jî di nav sînorên însafê de dîyar bike û wan îmkanên ku ji vî sînorî zêdetir bin jî di înfaqê de binirxîne.

## ĞEYRETA ZÊDEKIRINA COMERDÎYÊ

**Ehmed bin Ebûwerd** -rehmetûllahî eleyh- halê dostên Heq wiha xulase dike, dibêje:

“*Sê tişt hene ku ev çi qeder di evdekî welî de zêde bibin, halên wî yên sipehî jî ew qeder zêde dibin:*

1. *Çi qeder meqamê wî bilind bibe, tewazûya wî zêde dibe.*
2. *Çi qeder emrê wî dirêj bibe, xizmeta wî zêde dibe.*
3. *Çi qeder malê wî zêde bibe, comerdîya wî zêde dibe.*”

Yek ji dostên Heq Hezretê **Mehmûd Samî Remezanoğlû** ye. Ew di nav heyecana înfaqeke wisan de bû ku înfaq û xêrên ku wî dikirin ti caran ew kafî nedidîtin, dema ew diçû kargeha ku lê dixebitî jî pereyên ku wî yê bidana heqdesta mînîbûsê jî ji bo karibe wan înfaq bike ji Karakoyê heta bi Texteqale’yê birêve diçû. Wate, wî ji îhtiyaca xwe jî fedakarî dikir û hewl dida înfaqa zêdetir bike.

Lewra mal û îmkanên ku tên înfaqkirin sermayê seadeta ebedî ne. **Hezretê Mewlana** îşaretê bi rêya naîlîyeta vê seadetê dide û wiha şîretan dike, dibêje:

“ *Li vê dinyayê miqdarekî ji xwarin û vexwarina xwe ji bo xêra xwe kêm bike da ku di pêşerojê de tu hewzê Kewserê bibînî. Ma nêçîra dewletê çawa kare ji wî kesê ku qurtekê li axa wefa’ya xwe dirijîne, bireve?..*”

Îro jî divê herkes, -çendan bi fedakarîyeke biçûk be jî- ji rehetî û konfora şexsî ya xwe, ji dekora xanîyê xwe û ji hercîyên rojane yên xwe kêm bike û hewl bide ji bo heta mûmkin be ew vî exlaqê bilind bijî. Ji xwe rewşa mûhtac, mûzderîb û mezlûmên di nav civakê de ji bo mirovê xwedî wijdan tabloya îbreteke kafî ye.

Ew têrmalên ku bi vê îbretê hereket dikin, ji heyateke luks û rehetîya xasê xwe dûr disekinin. Lêbelê ewên ku ji van heqîqetan xafil dimînin û ji bo xwe mesrefên zêde dikin û dipekine nav vê bêhêzîya ku dibêjin; "ma ne malê min e, ez çawa bixwazim ezê wî wilo xerc bikim, bi îfadeya Qur'anê "**hevalê şeytanê nankor in**." [159]

## KORÎTÎYA NEMERDÎYÊ!..

Ji bo mirov karibe bibe ji ehlê înfaqeke rastîn, heyateke evdînîyê ya di qiwama îhsanê de şert e. Wate, her wekî ku mirov Cenabê Heq bibîne, mirov wilo jê re îbadetê bike. Ji bo mirov karibe di her zemanî û li her mekanî qudret û ezameta îlahî bibîne, divê çavê dilê mirovî vekirî bin. Ji bo mirov karibe bigihîje comerdîya rastîn jî divê mirov xwedî îmaneke wisan sağlem be ku her wekî bi çavê serê xwe mûkafata axretê bibîne wilo înfaqê bike.

**Hezretê Mewlana** vê heqîqetê wiha tîne zimên:

"*Hezretê Pêğember gotiye:*

*«Di roja qiyametê de ewê ku hemberê tê dayîn baş dizane; bawer dike ku ew yekî bide wê deh jê re werin dayîn, her dem comerdîya xwe di awayên curecur de zêde dike.*

*Comerdî dîtina hemû mûkafata ye. Ji ber vê comerdî umîd û keyfxweşîyê tîne, ew tirsa ji windabûna tişta ku hatiye dayin, dibe.»*

159. Îsra, 17/27.

*Nemerdî jî nedîtina mûkafatên ku Pêğemberê me mizgînîya wan daye. Dîtina durrê, keyfa noqavî tîne. Li gorî vê rewşê, divê li dinyayê ti kes ne nemerd be. Lewra heta hemberê wê nebe, ti kes nayê leystikê.*

*Naxwe comerdî ji çavan tê, ne ji destan. Ya ku kar dibîne çav e, dîtin e. Ji bilî wî yê ku çavê wî dibîne ti kesî din ji nemerdîyê xilas nabe.*"

Bi rastî jî nemerdî; hem li hemberî mirina ku dawîya heyatê ye û li hemberî rewşên piştî mirinê nankorî ye, hem jî li hemberî Rebbê mey ê ku her tişt aferandine û ji bendeyên xwe re lutf kirine nankorîyeke dehşetdar e.

Dîsa îqaza **Hezretê Mewlana** çi dehşetdar e:

"*Ewê ku li ber kevîya çem rûdine û zeğelîya avê dike, ew kesê kor e ku çem nabîne.*"

Rebbê me di ayetên pîroz de bi eşkerehî me bendeyên xwe ji dûçarbûna korîtîyeke dilî û nankorîyeke wiha îqaz dike, dibêje:

"**Çi ji we bûye ku hûn di rêya Xuda de înfaqê nakin? Halhale ku mîrasa asîmanî û ya erdê ya Xuda ye**." [160]

"**Xezîneyên asîmanan û yên erdê yên Xuda ne. Lêbelê mûnafiq di vê nagihin**." [161]

"**Ha bang li we tê kirin ji bo hûn di rêya Xuda înfaqê bikin. Hinek ji we nemerdîyê dikin. Lêbelê kî nemerdîyê bike, ew nemerdîyê li dijî xwe dike. Xuda zengîn e, hûn feqîr in..**." [162]

160. Hedîd, 57/10.
161. Mûnafîqûn, 63/7.
162. Mûhemmed, 47/38.

Wate em li ser milkê kê dijîn, em ji rizqê ku kê daye me, dixwin û di encamê de em malê kê ji ber kê digrin?!.

Bêşiwar xwediyê heqîqî yê milk Xuda ye. Ew nîmetên xwe bi emanetî dide me. Naxwe bende, emanetçî û memûrê teserrufê ye. Lêbelê memûrekî ji teserrufa xwe berpirs e... Ew bendeyê ku mal jê re hatiye emanetkirin, di aynî zemanî de ji bo feqîr û mûhtacî jî emanetçî ye. Ewê ku xwediyê vê hest û şiûrê be, nikare ji bo hawîrdorên xwe bêgane bimîne.

## TU ÎNFAQ BIKE JI BO ÎNFAQ LI TE JÎ WERE KIRIN...

Merhemet û înfaqa ku Xuda li mexlûqatên xwe kiriye, ew sipehîtirîn şandêrîya hezkirina ji Xuda ye û ew li hemberî nîmetên ku wî lutf kirine jî sipehîtirîn îfadeyeke şukrê ye. Çi qeder îhtiyaca me bi lutf û merhemeta Rebbê me hebe, ew qeder em mecbûr in ku li hemberî evdên wî yên mûhtac û hemû mexlûqatan jî comerd û lutfkar bin. Lewra ew ji bo me wesîla îmtîhanê ne.

Di hedîsa qudsî de hatiye gotin:

*“Ey kurê Adem! Tu înfaqê bike ji bo înfaq li te jî were kirin!”*

Dîsa Mezinê me Pêğember di hedîseke şerîf de dibêje:

“*Înfaq bike, nejimêre û nesekine, (heke na) Xuda jî wê nîmetên xwe li hemberî te bijimêre û ji ser te bigre. Pereyên xwe di kedûn de neveşêre, (heke na) Xuda jî wê ji te veşêre.*” [163]

Wate ji bo mirov karibe bibe mûmînekî sipehî yê ku Xuda jê razî be, çawa Xuda nîmetên xwe ji me re îhsan kirine aynî wisan

163. Buxarî, Zekat, 21; Mûslim, Zekat, 88.

em jî mûkellef in ku ji bendeyên mûhtacên wî re bi comerdî îkram bikin.

**Rebbê me, ji dilên me wecda îmanê, ji rûhên me keyfxweşîya comerdîyê û ji wijdanên me jî hizûra înfaqê kêm neke!**

**Amîn..**



# *Edeba Înfaqê*

*Mûmîn, însanê comerd e. Comerdîya heqîqî jî ev e; çavê mirov neşike, destê mirov nelerize û mirov karibe wilo îhsanê bike, mirov karibe wekî baranên biharê heyatê ji dilan re bexş bike, mirov karibe ji dil û can bi temjê-dîtin înfaqê bike. Mûmîn, aynî wekî çîçeka ye, çawa ew bêhna xwe ya xweş bi comerdî ji hawîrdorên xwe re îkram dikin, divê ew jî wilo karibe bi edayeke tebîî û rûhanî înfaqê bike da ku xêr û hesenata wî ku kirî, li cem Heq bihayekî îfade bike!..*

*Şêx Sadî çi xweş dibêje:*

*"Tu yê ku naçî ber derîyê ti kesî ji bo tiştekî jê bixwazî, wek şukrê vê, feqîrê ku were ber derîyê te neqewirîne, mirûzê xwe jê neke, bi tebessumê pêşwazîyê li wî bike.."*

# EDEBA ÎNFAQÊ

Dema em li cewher û ğaya tesewwufê binêrin; em dibînin ku wesîteya esasî ya wê di înkîşafa manewî de “mehebbet” e, û di vê tereqqîyê de jî zirwe “rîayeta edebê” ye, wate bi edeb-bûn e. Li ser vî esasî mûmîn, bi qasî ku karibe merkeza dilê xwe ji Xuda û Pêğember re texsîs bike, ew qeder ew di rêya naîlîyeta wusletê de ye.. Mezintirîn elametê vê jî bi exlaqê nebewî xwedî exlaq-bûn e.

Cewhera exlaqê nebewî, “**hesta edebeke**” bilind pêktîne. Çawa bi îfadeya eshabê kîram, **Mezinê me Pêğember** ji qîzeke bakîre ya ku perde û hîcaba xwe lixwekirî bêhtir xwedî heya bûye. Dîsa Wî di xusûsa îfadekirina edeba xwe de gotiye: “*Rebbê min ez edeb kirim, hem jî edeba min sipehî kir*.” [164]

**Hezretê Mewlana** di “**edeb**”a ku fezîleta nuqta zirweyî ya însanîyetê îfade dike de wiha dibêje:

“*Heke tu dixwazî serê şeytan biperçiqînî, çavê xwe veke û bibîne; edeb şeytên dibeecîne. Heke edeb di însên de nebe, di rastîya xwe de ew ne însan e...*”

Li ser vî esasî zemanê berê yek ji mûhîmtirîn lewheyên îqaza tekya û dergehan jî «ادب يا هو» (Edeb ya Hû!..) bûye. Çawa ev îfade îqazeke ku însanî ji bo rîayeta edebê bang dike, di aynî zemanî de ew nîyazeke ku bi vê maneyê tê; “*Ya Îlahî! Edebê lutf bike!*”

164. Suyûtî, Camîûs-Seğîr, I, 12.

Hesta edebê ku cewhera îmanê ye, xesleteke wisa ye ku dorê li her sefheyekê ji heyata mûmînî digre. Nexasim ew di xwe de heyata wî ya îbadet û mûamelatan dihewîne.

Cenabê Heq eşkere gotiye; min evdên xwe aferandine ji bo ew sirf îbadetê ji min tenê re bikin. Naxwe îbadet û mûamelat, ji bo evdînîya me ya ji Heq re her wekî raya can e. Wate mirov, nikare heyateke evdînîyê ya bê îbadet û bê mûamelat bihizire.

Digel vê jî, bi qasî edakirina wacîbatên evdînîyê ji Heq re, heta tu bibêjî bes keyfîyet û awayê edakirina wan jî mûhîm e. Lewra di îbadet û mûamelatan de rîayeta edebê, ji bo gihiştina riza û mehebbeta Heq tekane merc e. Ji lewma ew îbadetê ku mirov ji mecbûrîyetê bi awayekî ğafîlane, bê îttîba usûl, erkan û edebên wan eda bike, ecra wan zayî dibe û ji xwedîyê wan re sade westineke bêfeyde dimîne.

Çawa di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

“*Gellek rojîgir hene ku ji rojîya wan bes ji wan re birçîbûneke ziwa dimîne! Gellek bi şevnimêj hene ku ji nimêjên wan bes ji wan re bêxewîtî dimîne.*” [165]

Nimêj sitûna dînê me ye. Çawa ku têde gellek rukn û şertê xuşûê hene, aynî wisan di înfaqa zekat û sedeqan de jî hinek qaîdeyên edeba wan hene ku divê bi titîzî rîayeta wan were kirin. Di rewşa berevajî de çawa Xuda di Qur’anê de di bara mirovên ku bi awayekî ğafilane nimêj dikin de gotiye: “**Xwelî li wan nimêjkeran be!**” [166] Bi vî awayî, îtabeke tund li wan kiriye, aynî wisan di îbadetê înfaqê de jî şanîdana helwesteke şaş jî evdî ji heman encama xirab re dûçar dike.

165. Îbnûmace, Sîyam, 21.
166. Maûn, 107/4.

## ÎNFAQ Û SEDEQEYÊN XWE PÛÇ NEKIN!..

Rebbê me, wê edeba ku divê em di înfaqê de li ber çavan bigrin, wiha dide zanîn, dibêje:

**“Ewên ku malên xwe di rêya Xuda de înfaq dikin û piştî dayînê jî minnetê nekin û eziyetê nedin hene ha; ji bo wan li cem Xudayê wan xelat heye. Tirs ji wan re nîn e û ew ğemgîn jî nabin.**

**Gotineke xweş û lêborîn, ji dayîna sedeqeyeke ku li dûv wê êşandin hebe, çêtir e. Xuda dewlemend û berbuhêr e.**

**Gelî yên ku îman anîne! Wekî yên ku bi riyakarî malên xwe înfaq dikin, lêbelê di rastiyê de bi Xuda û roja axretê îmanê nayînin, sedeqeyên xwe bi minnet û êşandinê pûç nekin. Rewşa wan dişibihe rewşa tehtekê ku li serê hinek ax heye. Êdî baraneke gur lê dibare, axê ji serê dibe û wê hilû bihêle. Xêrên wan jî wisan winda dibin, ji xêrên ku kirine nikarin tiştekê bidestxînin û Xuda rêya rast nîşanî wî qewmê kafiran/nankoran nade**.” [167]

Rebbê me, di van ayetên pîroz de edebên ku divê em di xêr û hesenatan de rîayet bikin, bi eşîkerehî ji me re dide zanîn. Wate, ew xêrê ku em bikin û em pê re qelban bişikînin, yan em hewcedarî biçûk û bêqîmet bibînin, yan em wî biêşînin, yan jî em wê sedeqa xwe bixin minnet, li cem Xuda ti qîmet ji wê sedeqê re namîne. Ewên ku bi dilekî wiha hov û bêhest înfaqê dikin, ew bi destê xwe xêra xwe mehû dikin û ecra sedeqa xwe jî tam pûç dikin!..

Îkram û îhsana xwe ji xwe re kirina minnet, sade bi pûçkirina sewaba wê xêrê tenê namîne, her wiha ew ğezeba Xuda jî ji xwed-

167. Beqere, 2/262-264.

iyê xwe re celb dike, tîne. Çawa **Mezinê me Pêğember** carekê tam sê caran li ser hev got:

“-*Sê kes hene ku roja qiyametê Xuda bi wan re napeyive, li wan nameyzîne û wan dernaxe temîzîyê. Ji bo wan ezabekî dijwar heye*.”

Ebûzer jê pirs kir, jê re got:

“-Bila navê wan biwêdetir here, bila ew negihin mirada xwe û bila li xisarê bikevin! Ya Resûlellah! Ev kî ne?”

Mezinê me Pêğember got:

“-*Ew kes in ku cilên xwe (ji ber kibr û serxweveçûna xwe) li pey xwe dikişkişînin, bi sûndên derew malên xwe didin ber bazarê û tiştên ku didin jî dixin minnet!*” [168]

Wekî ku tê dîtin, ew înfaqên rîyakarane yên ku di piştî wan de minnet û heqaret tê, ji curm û gunehên giran in. Ew sewabê ji evdî re nayênin lêbelê wî ji bo ezabê dûçar dikin. Lewra qelb nezargeha îlahî ne. Divê ew neyên êşandin...

Di ser van tevan re jî zekat û sedeqe, di serweta maldaran de ji bo hewcedaran mafekî xwezayî ne ku bi fermana îlahî hatine tayînkirin. Naxwe ji nav malê xwe derxistina wî mafî û bi feqîran dana wî ne lutfeke; lêbelê ew sade teslîmkirina wî heqî ji bo cihê wî ye. Serweta dinyayî emanetekî îlahî ye. Jibîrkirina vê rastîyê, ji ber gihandina nîmeta Xuda bi evdê wî parek ji bo xwe derxistin û qencî ji xwe re kirin aîd û kirina hinek hal û hereketên rîyakarane yên ku ezîyetê bidin hewcedaran; ğeflet, xamîtî û nezanî ye.

Naxwe îcab dike ku mirov di înfaqê de xwe mezin neke, yê feqîr biçûk nebîne, tam berevajî vê bila mirov xwe bixe şûna yê feqîr û tefekkur bike ku çêdibe ew jî rojekê bikeve rewşa wî. Lewra

168. Mûslim, Îman, 171.

zengînî, yan jî feqîrî çendan biçekê karê cehd û xebatê be jî lêbelê ya zehftir karê bext û şens e. Xuda dikare yê zengîn feqîr bike û dikare yê feqîr jî zengîn bike. Naxwe zengînî û feqîrî li cem Heq, ne endaza çêtirbûnê ne. Herdu jî li vê alemê şeklekî îmtîhanê ne. Çêtirbûn, bes bi teqwayê ye. Naxwe ji ber înfaqa xwe li hemberî yê feqîr serxweveçûn, ji sirrên îmtîhana li heyata dinyayê jî ğafilbûn e.

**Şêx Sadî** di berhema xwe ya bi navê *Bostan*ê de dibêje:

"*Dema te qencî li yekî kir, xwe mezin neke! û nebêje: «-Ez mezin im, ez mêr im, îhtiyaca wî bi min heye!» Dema şûrê zemanî, li wî kesê mûhtac daye! Lewra ew şûrê ku li wî daye hê neketiye kelanê xwe; mûmkin e ku ew şûr rojekê te jî biçine*."

Kesên maldar, divê zanibin xwe bixin cihê feqîran, tefekkur bikin û bibêjin; "Rebbê me dikarîbû wan di cihê me de û me jî di cihê wan de biaferîne. Madem wî derfet dane me û ew jî kirine hewcedar, naxwe wî ew ji me re kirine emanet, lawaz li ser xurtan zimmet kirine, em ji wan berpirs kirine û ferman li me kiriye; wek şukraneya nîmetên ku wî dane me, em hinek malê xwe li ser wan înfaq bikin.."

Dîsa di heman berhema wî de ev nesîhetên **Şêx Sadî** jî pirr manedar in:

"*Heke ğerîbek were ber derîyê te, wî destevala neşîne. Xudê neke, belkû tu jî rojekê bibî ğerîb û li ber derîyan bigerî.*

*Pirsa halê mirovên dil birîndar bike, li wan binêre. Belkû tu jî rojekê bikevî wê wezîyetê.*

*Tu yê ku ji bo tiştekî bixwazî naçî ber derîyê ti kesî; wek şukraneya vê, wî belengazê ku tê ber derîyê te, neqewirîne, mirûsê xwe jê neke, bi tebessum pêşwazîyê li wî bike...*"

Çawa Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

**"Ma Wî Tu feqîr nedîtî û zengîn nekirî? Naxwe tu yê sêwî serkut neke! Zinhar li erza wî yê ku destê xwe vedike û dixwaze, nexe. Û nîmetê Rebbê xwe bi minnet hilanîn û şukran bibîr bîne**." [169]

Mûhîmtirîn qismê bi nezaketê mûamelekirina bi mûhtacan re minnet lê nekirin, ezîyet nedan û xwe mezin nekirin e. Ji bo vê jî, naxwe xêra ku mirov wê dike, îcab dike ku piştre mirov derhal wê jibîr bike.

**Luqmanê Hekîm** çi xweş dibêje:

"*Du tiştan jibîr neke: Xuda Teala û mirinê.*

*Du tiştan jî jibîr bike: Qencîya ku te li dîgeran kiriye û xirabîya ku dîgeran jî li te kiriye.*"

Bi maneya rastîn bûna evdek ji ehlê înfaq; nîmeteke pirr giranbiha ye ku li herdu dinyayan jî hizûrê bexş dike. Ewê ku karibin bi awayekî layiq vî îbadetî bînin cih, wekî ku Rebbê me jî mizgînî daye, ewê di zehmetîyên dehşetdar ên qiyametê de ji tirs û kederan salim û ewle bibin. Ji lewma Rebbê me yê ku merhemeta wî bêdawî ye, bi sedan ayetan û Mezinê me yê ku bi şefqet li ser ummeta xwe dilerizî bi gellek hedîsên şerîfên xwe, em ji bo gihiştina hizûr û seadeta înfaqê teşwîq kirine.

Înfaq nîmeteke ew qeder mûezzam e ku qîmetê wê dikare bi awayekî temam li axretê tam were zanîn, ji bo bi sebeb hinek helwestên nezanane neyê zayîkirin, Cenabê Heq em evdên xwe şîyar kirine û ferman li me kiriye, gotiye; edeba înfaqê rîayet bikin.

Mûmîn, însanê xwedî **sexawet** e. Sexaweta heqîqî jî ev e; mirov *karibe* çavê xwe neşikîne û destê xwe nelerizîne, bi qasî barana ku dibare ew qeder bi rehetîyeke siriştî ji dil û can înfaqê bike. Wate,

169. Dûha, 93/8-11.

xêr û hesenat aynî wekî çîçeka ye, çawa ew bêhna xwe ya xweş bi comerdî ji hawîrdorên xwe re îkram dikin, divê mirov jî wilo bi edayeke tebîî û rûhanî înfaqê bike da ku li cem Heq bihayekî îfade bike!.. Ha înfaqeke wiha ew înfaq e ku digihîje Cenabê Heq. Çawa di ayeta pîroz de hatiye gotin: "... **Xuda sedeqeyan werdigre**..." [170]

Dostê Heq **Hezretê Mewlana,** bereketa înfaqeke ku wiha bi haletekî rûhî yê nazik hatiye kirin çi xweş îfade dike:

"*Tu, hebûna xwe, malê xwe û milkê xwe bi awayekî sipehî înfaq bike û dilekî xweş bike! Da ku dûaya wî dilî, di qebrê de, di wê şeva ripûreş de ronahîyê bide te, bibe nûr!..*"

Naxwe dema tu înfaqê bikî, çawa em malê xwe, yan jî îmkanên xwe ji ber mûhtacan nagirin, îcab dike ku em tebessum û nezaketeke hindik jî ji ber wan negrin.

Dostê Heq **Hezretê Mehmûd Samî Remezanoğlû**, dema hewcedarek didît, heke ew di erebê de bûye otomobîl dida rawestandin, derî vedikir, çend gavan ber bi yê mûhtac ve birêve diçû, ew sedeqa ku dida jî bi tebessum û nezaketa xwe hê jî sipehîtir dikir û teslîm dikir.

## ÎNFAQA BI EDAYA TEŞEKKURÊ

Edeb û nezaketa Îslamî, înfaq-kirinê û wê wek nîmet-wergirtin, lazim dike. Ji bilî vê jî ewê ku dide divê li hemberî mirovê ku jê werdigre, hest bi teşekkurê bike. Lewra ew, wî ji mesûlîyetê xilas dike û dibe wesîle ji bo ew ecr û mûkafatê qezenc bike.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

170. Tewbe, 9/104.

"...**Hûn, wek xêr çi xerc bikin, ew ji bo we qencîya ye. Hûn çi xêrê bikin, wê ji bo qezenckirina rizaya Xuda, bikin. Hûn wek xêr çi bidin, hemberê wê dê tam ji we re were dayîn û bi ti awayan wê neheqî li we neyê kirin**." [171]

Naxwe esl, yê ku ew xêr kiriye, ew bi xwe bereketa wê dibîne. Hem jî bênuqsanî û bi qasî îxlas û semîmîyeta wî qat bi qat mûkafata wê jê re tê dayîn... Wate înfaq, çendan di zahirê xwe de ji bo yê ku wê werdigre bi havil û feyde dixuyê; lêbelê di heqîqetê ew ji bo yê ku wê dide bi havil û feyde ye. Ji lewma divê ewê ku înfaqê dike, minneta xwe li yê ku wê werdigre neke, tam berevajî vê divê ew minnetê ji wî hilîne ji ber ku sedeqe ji destê wî girtiye û ji bo xwedan xêr-bûna wî jî bûye wesîle.

**Şa'bî** dibêje:

"*Ew zengînê ku îhtiyaca xwe bi sewaba sedeqê ji îhtiyaca feqîrî bi sedeqê bêhtir nabîne, wî sedeqa xwe pûç kiriye û ecra xwe winda kiriye*."

Wate, dema em malê xwe li ser feqîran înfaq bikin, divê ji mûxatebê me bêhtir em dilê xwe kontrol bikin, heke em karibin ji bo sexaweta rastî naîl bibin, hingê em ketine xêra Xudê!..

Gellek mirov hene ku qencîyê dikin, ji bo wê ji xwe re bikin minnet, yan pê ezîyetê bidin feqîran, yan jî bi bendewarîya menfîeteke dinyewî. Lêbelê ew kesên ku hem înfaqê, hem jî mûhtacan nîmet dizanin, pirr hindik in. Divê evd, ji bo ku Rebbê wî firsenda înfaqê daye wî, şukrê wî bike û ji bo mûhtac ji înfaqkirina wî re bûye wesîle jî, minnetê jê hilîne.

Ev nesîheta **Şêx Sadî** di xusûsa nîmet zanîna înfaqê de pirr bi hikmet e:

171. Beqere, 2/272.

"*Ji Xuda re şukr bike ji ber ku tu ji bo kirina xêrê biserxistî. Lewra Heq Teala, bi lutf û îhsana xwe tu vala nehiştî. Ewê ku xizmetê ji padîşah re dike, minneta xwe naxe stûyê wî. Lêbelê ji ber ku wî tu îstixdam kirî tu ji wî re minnetbar be!.*"

Halê înfaqa bavê min **Mûsa Efendî -**rehmetûllahî eleyh- di vê xusûsê de di xwe de endazên edebê îhtîwa dikirin ku divê mirov wî ji bo xwe bike nimûne. Wî înfaqa xwe di nav uslûbeke zehf sipehîya Îslamî, nezaket û zarafetê de dikir. Wî çi qeder dida kê, ew dixist zarfeke zehf sipehî û li serê jî piştî xîtabeke hurmetkarane ev hevoka ha dinivîsand, digot:

"*Ji ber ku we îkrama me qebûl kir, em ji we re teşekkur dikin.*" Wate ji ber ku tu ji bo riza'ya Cenabê Heq bûyî wesîle, bi vî awayî ew li hemberî mûxatebê xwe di nav teşekkureke dilî ya semîmî de dibû û ji bo mûxatebê xwe di bin minnetê de nehêle jî titîzî şanî dida.

**Hezretê Mewlana**, di beytên/malikên xwe yên tije hikmet de wiha dibêje:

"*Kesê feqîr ayneya comerda ye. Zinhar li hemberî aynê peyvên dilşikîn nebêje û neke ku ew hilm bigre.*"

"*Çawa îhtiyaca feqîrî bi comerdî û qencîyê hebe, aynî wisan îhtiyaca comerdî û qencîyê jî bi hewcedarî heye. Sipehî ji bo sipehîtîyên xwe temaşe bikin çawa li ayneyeke toznegirtî, jengar-negirtî û berraq digerin, aynî wisan comerdî jî li feqîr û zeîfan digere.*"

"*Tezahura tecellîya comerdîya Xuda, feqîr in. Ew feqîrên ku serî li xwedîyê keremê didin. Derdên xwe ji wan re vedibêjin. Bi vî awayî ew ji zengînên hemîyetperwer re rêya seadetê hazir dikin.*"

Ji lewma dema hewcedar were ber destê me û îhtiyaca xwe li me erz bike, divê em vê ji xwe re wek lutfeke xusûsî ya Heq wergirin û em vê şerefa evdînîya ji Heq re zanibin.

**Hezretê Elî** vê heqîqetê çi xweş îzah dike:

“*Du nîmet hene ku ez nizanim kîjan ji wan bêhtir min keyfxweş dike.* ***Ya yekê*** *ev e; dema mirovek bi hêvîya ku ezê îhtiyaca wî temîn bikin, were cem min û bi hemû semîmîyeta xwe arîkarîyê ji min dixwaze.* ***Ya duduyan jî*** *ev e; Ellah Teala bi wasîteya min arzûya wî kesî bîne cih yan jî wê hêsan bike. Ez birina diltengîya mislimanekî li ser bûna xwedî ji bo zêr û zîvên dinya ji wan tije, tercîh dikim.*” [172]

Ew kesên ku înfaqê dikin lêbelê bi înfaqa xwe qure dibin, yan teşekkur û minnetê ji feqîran hêvî dikin, temamê ecr û bereketa xêrên xwe xîç dikin û dimalin. Ewê ku înfaqê dike, divê ji riza’ya îlahî pê ve ti meqsedeke din nexe dilê xwe û mûkafata wê jî bi temamî ji Heq Teala tenê hêvî bike. Divê ew ji bîra xwe dernexe ku heta ji hewcedarî hêvîkirina dûa û teşekkurê jî rewşeke wisa ye ku sihê tîne ser îxlasa wî.

Di vê meyanê de ew înfaqa ku **Hezretê Elî** û **Hezreta Fatima** kirine, û ayeta teqdîrê/bihapêdanê ji terefê Ellah Teala ve di bara wê de hatiye, divê ew ji bo hemû mûmînên ehlê înfaqê bibe nimûne:

“**Ew, digel ku pêdiviya wan pê heye û jê hez dikin jî dîsa xwarinê didin xizan, sêwî û yexsîran. Ji wan re dibêjin: «Em bes ji bo rizamendîya Xuda xwarinê didin we; em ji we ti perûyekê û ti spasiyekê jî naxwazin. Em vê qencîyê dikin, lewra em ji rojeke dijwar û bi bela ya Xudayê xwe ditirsin.» Ha ji ber vê Xuda, wan ji neqenciya wê rojê diparêze, rûsipehîtî û dilşadiyê dide wan**.” [173]

Di bara hessasîyeta ‘dana sedeqê “**hesbeten lîllah**” wate “sirf ji bo rizaya Xuda” û ji bo ecra wê kêm nebe jî heta hêvî nekirina teşekkurê’ de, ev halê dêyên ummetê jî çi mîsaleke sipehî ye:

---

172. Elî el-Mûtteqî, Kenzû’l-Ummal, VI, 598/17049.
173. Însan, 76/8-11.

Dêyên me **Hezreta Aîşe** û **Ummû Seleme**, dema tiştek ji feqîrekî re dişandin, tenbih li yê ku ew dibir, dikirin; ji ber bike ka ew feqîr bi çi awayî dûa dike û wan bi xwe jî heman dûa ji wî feqîrî re dikir. Wan (endîşe dikir û) digot: Bi vî awayî, ji bo dûayên me bibin hemberê dûayên wî. Wan digot; ewê bibe hemberê sedeqê ji lewma dûa jî ji feqîran hêvî nedikirin. Lewra dûa, di hemberî sedeqê de dibin. [174]

## RÊYA NAÎLÎYETA BIRRÊ

Rebbê me di ayeta pîroz de dibêje:

"**Heta hûn ji tiştên ku jê hez dikin** (di rêya Xuda de) **xerc nekin, hûn bi «birrê»** (bi nuqta kemala xêrê) **nagihîjin...**" [175] Bi vî awayî di xusûsa qezenckirina nêzîkbûna ji wî bi xwe de hedefeke bilinda evdînîyê şanî dide.

Yek ji wan edebên ku divê mirov ji edebên din zehftir lê miqate be, "**karîna înfaqa ji tiştên ku jê hez dike**"ye. Lewra ev hessasîyet, sewîya mehebbeta îmana evdî ya ji Rebbê wî jî nîşan dide.

Naxwe divê em jî hewl bidin û bi awayekî sipehî mûhasebe bikin ka di nav malê me de çi zehf li xweşîya me diçe, ew tiştê ku heke ji me re were dayîn emê jê razî bibin çi ne, em bi dana wan sewîyê bi înfaqa xwe bidin qezenckirin. Bi vî awayî divê em di rêya çûna kemala xêrê de mesafê qut bikin. Divê em xwe bixin şûna yê feqîr, em bihizirin ka em dixwazin çawa înfaq ji me re were kirin, em jî wilo înfaqê li feqîran bikin û em teseddùq bikin. Lewra Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

---

174. Îhya, I, 601.
175. Alî Îmran, 3/92.

**"Gelî yên ku îman anîne! Ji qezenca xwe ya pak û ji ya ku Me ji we re wek rizq ji erdê deraniye li xêrê xerc bikin. Ji bo dana xêrê berê xwe nedin wî tiştê xirab ê ku heke ew ji we re were dayîn, heke hûn çavên xwe jê negirin, hûn nikarin wî bi dilên xwe wergirin. Bizanin ku bi rastî Xuda, dewlemend û pesnande ye.**" [176]

Bila însan, dema ew tiştên bêqelîte û nebaş ên ku jê re werin dayîn ewê bi hizûra dilî ya xwe nikaribe raje wan, bi awayê dana wan ji feqîran re zen neke ku wî înfaq kiriye. Naxwe ew cilên kevin, xwarinên sar û bexşên sembolîk ên ku em bi serê destên xwe ji bo wê demê didin hewcedaran ji bo keyfa wan bînin, piştre em wan bi hewcedarî û mehrûmîyeta wan re rûbirû dihêlin, ev bi maneyeke rastî înfaq nayê jimartin.

Mûmîn, însanê sahib **kerem** e. Kerema rastî jî ne ev e; mirov înfaqê daxe miqdarekî besît û esğerî, tam berevajî vê divê mirov karibe înfaqê ji tiştên ku jê hez dike, yên bi feyde û bi qîmet bike ku problemekê çareser bike û ji singê re bibe şîfa.

## DI BIRR Û TEQWAYÊ DE HEVKARÎYÊ BIKIN!

Ji înfaqê meqsed ev e; mirov karibe mûhtacî bi temamî ji tengasîyê xilas bike. Helbet bûtçeya herkesî, yan jî derfetên wî bi tena serê xwe ji bo vê kafî nayên. Naxwe îcab dike ku mirov di xêrê de bibe yek û hevkarîyê bike. Çawa Rebbê me dibêje:

"**Di birr û teqwayê de hevkarîyê bikin**.."[177]

Wate, di qencîyê de, di karên xêr û hesenatan de hevkarîkirin, fermana Rebbê me ye. Maneya hevkarîyê ev e; bi taybetî di

176. Beqere, 2/267.
177. Maîde, 5/2.

xizmetên ku qencîyên ferdî jê re kafî nayên de bila mirov bi hev re hereket bike, bi xebateke sîstematîk xêrê bide înkîşafkirin û heta mirov wê bi mûessese bike.

Ji vê hêlê ve, di rewşa ku hêz û derfetên me di sewîyekeke wisan de bibin ku ji derdan re bibin derman, divê em hewl bidin ku derdorên xwe jî ji bo xêrê teşwîq bikin û em vê fermana Rebbê xwe; “**di birr û teqwayê de hevkarîyê bikin**” di heyata xwe de bijîn..

Tişta ku li mûmînekî heqîqî tê ev e; ew tim û daîm di lêgerînê de be ji bo karibe xêr û hesenatan bike. Ew mûmînê ku xwediyê vê şiûrê be, çendan wî îmkaneke maddî nebe ku înfaq bike jî, bila ew wextê xwe û keda xwe înfaq bike belkû bi vê, ewê karibe ji bo xêrên mezintir bibe sersebeb û wesîle.

Divê em nekevin wê nexweşîya têgihiştina înfaqê ya ku îro di civaka me de zehf belav e. Ew jî ev e; em bi awayê kirina hinek arîkarîyên cuzî yên ku ji singê re nabin derman feqîrî ji ser xwe derbas bikin û em wijdana xwe wiha tesellî bikin. Divê em bihizirin ku ji wan nîmetên Rebbê me ji lutf û kerema xwe dane me, em karin çendan ji çendan di rêya wî de li ser jar û belengazan înfaq bikin?! Gelo ew miqdarên ku em karibin înfaq bikin li tenişta yên ku em ji bo xwe xerc dikin di çi rêjeyê de ye? Yan jî em halê xwe di xusûsa înfaqê de li ber halê civaka xwe qiyas dikin û em bi arîkarîyên biçekî ji yên wan zehftir wijdana xwe tesellî dikin?

Haleveku em wek mûmîn divê di her xusûsê de xwe bi Mezinê xwe Pêğember û eshabê guzîde yên wî qiyas bikin. Lewra Cenabê Heq li me ferman kiriye ku em wan evdên mûtteqî yên wî ji xwe re bikin nimûne (ne ferdên jirêzê yên civakê).

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“(Ewên ku di xusûsa mislimanbûnê de bûne) **pêşiyên pêşîn û ewên ku di îhsanê de li pey wan diçin hene, ha Xuda ji wan razî bûye, ew jî, jê razî bûne**.” [178]

Nesla sehabîyan a ku Rebbê me, ji me re nimûne şanî daye, wan ji malên xwe û canên xwe fedakarî kiriye **cara pêşî** bi tengasî yên ku kişandine di serdema Mekkê de **bedelê îmana xwe dane**. **Wek cara duduyan** jî bi caran sing bi sing ji êrîşên mûşrikan re rûbirû mane, **bedelê jîyîna mislimanane ya xwe dane**. **Wek cara sisêyan** jî bi xizmeta teblîğê nûra hîdayetê hilgirtine û gihandine sedsalên piştî sedsala xwe bi vî awayî, **bedelê mesûlîyeta îmana xwe dane**. Wan hemû nîmetên di dest xwe de di rêya Heq de seferber kirine. Lewra ew tim û daîm di tefekkura vê ayeta pîroz de bûne:

“**Paşî hesabê nîmetan ên ku we** (li dinyayê) **ji wan îstîfade dikir helbet û helbet dê ji we were pirsîn!**.” [179]

Ji bo em jî karibin bibin ji ehlê înfaqê yên heqîqî, divê em nesla eshaban ji xwe re bikin nimûne û em jî di nav mûhtewa’ya van hersê wesfan de kar bikin.

## EWÊ KU JI BO XÊRÊ BÛYE WESÎLE, HER WEKÎ YÊ KU XÊR BI XWE KIRIYE

Divê em temennî bikin ku înfaqên me kirine di nav civakê de birînekê bipêçe û ji derdan re bibe derman. Di vê xusûsê de di rewşên ku em bi tena serê xwe jê re kafî neyên de jî;

Em di şûna ku xwe bidin kenarekî, em hewcedarî bi kederên wî re rûbirû bihêlin û bibêjin; “*ma em çi bikin, bes ev qeder ji destê min tê.*.” de;

178. Tewbe, 9/100.
179. Tekasur, 102/8.

Divê em bi hizra "*gelo ez dikarin hinek mirovan peyda bikim ji bo karibim vî însanî ji tengasîyan xilas bikim?..*" em bikevin nav lêgerînê û em hewl bidin ji bo di navbera hewcedaran û mirovên xwedan îmkan de wezîfa pirê bibînim. Lewra çawa di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Ewê ku ji bo xêrê bûbe wesîle, her wekî yê ku xêr bi xwe kiriye.*" [180]

Ji bo vê heqîqetê ye ku dostên Heq bi her wesîlê û di her firsendê de însan ji bo kirina xêrê teşwîq kirine û bi awayekî maneyî ji bo xêrên wan bûne şirîk û ev fezîlet jîyane.

Bav û kalên me ji ber ku bi vê şiûrê hatibûne stran ew di xêr û hesenatan de bûne zirwe û civaka xwe di halê cîhazeke şefqetê de bi mûesseseyan xemilandine.

Di vê meyanê de di pêkhatina şexsîyeta Fatih Siltan Mehmed Xan de û di fethan de kedeke mezina **Hezretê Aqşemseddîn** heye. Ev rewşa wî pirr manedar e:

Di piştî nimêja îna pêşîn a ku li pey fetha Stanbûlê hatibû de li Okmeydanîyê alayî-ya (rêw-resma) feth û zaferê hatibû kirin. Padîşah hîç ti caran ew arîkarîya ku di fetha mûhteşem de ji hawîr-dorên xwe wergirtibû jibîr nedikir, piştî wî got:

"-*Rehma Rehman li şehîdan be, şan û şeref ji ğazîyan re be, fexr û şukran ji hevwelatîyên min re bin…*" Ji bo leşker-sivîlan tam ji bo sed û heftê hezar kesan wek hedîya fethê mal, milk û zevî belav kirin. Tam di vê navberê de rêberê manewî yê Fatih, dostê Heq Hezretê Aqşemseddîn bang li ğazîyên li wir hazir kir û ev şîret li wan kir, ji wan re got:

180. Tirmizî, Îlm, 14.

"-Gelî ğazîyan! Zanibin ku di bara we tevan de Pêğemberê Axirzeman gotiye: «*Ew çi xweş leşker in*..» Xuda hez bike hûn tev meğfûr in. Vêga jî malê ğezwê îsraf nekin, li xêr û hesenatan serf bikin, ji padîşahê xwe hez bikin û bi xebera wî bikin!.."

Bi vî awayî ji bo fezîleta artêşa ku Stanbûl fetih kiribû bi fezîleteke din tacdar bike ew tev ji bo avasazîya bajêr û ji bo damezrandina mûesseseyên xêrê yên ji bo îstîfada xelkê teşwîq kirin. [181]

Em jî wek millet nevîyên wan bav û bapîran e ku medenîyeteke fezîletan anîbûne meydanê. Em jî îro berhemên bereketa medenîyeta mûstesnaya ku wan di nav endazên zarafet, nezaket û edebê de damezirandine wek weqf, xwarinxane, sebîl, kevirên sedeqan û yên wekî van de, dibînin. Divê em jî xwedîtîyê li vê mîrasa pîroza bav û bapîrên xwe bikin, em hewl bidin wekî wan mûesseseyên xêrxwazîyê damezrînin û yên ku wan damezirandibûn jî bidin jîyandin. Divê em pêşî dinyaya navxweyî ya xwe bi fezîletan bixemilînin û xwe wek nimûne pêkbînin; piştre jî ji bo parastina nirxên pîrozên me û welatê me yê ku emanetê şehîd û ğazîyên me ne, divê em neslên îmandar, bi keyfîyet bilind û welatperwer perwerde bikin, bigihînin. Di rewşeke berevajî de heke dîn zeîf bibe, nesl jî wê zayî bibin û welat jî wê dest biguherîne. Divê em di nav îdraka vê mesûlîyetê de bibin mûmînên ehlê înfaqê.

**Welhasil,** mûmînê ehlê înfaqê, însanê **dîgerkam** e. Ew însan e ku dizane ji bo em sibehrojê karibin di mehkema îlahî de beraeta xilasîya xwe wergirin, ew îro di xebat û himmeta ji bo beraeta dîgeran re derbas dibe. Lewra Rebbê me tîpa însanekî hov, xwedğem, ezperest û nemerdê ku menfîeta xwe dihizire, red dike, qebûl nake.

---

181. Semîha Ayverdî, Turk Tarîhînde Osmanli Asirlari, Îstanbûl 1999, rûp. 227-228.

Li ser vî esasî divê em jibîr nekin ku çi qeder em karibin mesûlîyeta dîgeran li ser milên xwe his bikin, ew qeder emê karibin hesabê mesûlîyeta xwe bi hêsanî bidin.

**Rebbê me, ğeyreta dînî ji bo tevan îhsan bike. Me bike ku em karibin di nav endazên edeb û nezaketê de sirf bi umîda riza'ya îlahî înfaqê bikin û dilên me ji bo hizûr û seadetê bixe xezîne!**

**Amîn..**



# Di Înfaqê De Îxlas

*Di diravan de qanûna cazîbê carî ye ku ew li gorî keyfîyeta hatin qezenckirinê diguhere. Dirav wekî mar e; ew di kîjan qulê de hatibe di aynî qulê re diçe jî. Naxwe qezenca helal, ji bo xêr û fezîletan dibe wesîle, qezenca heram jî di rêyên şer û xirabîyê de dihele û diçe. Li ser vî esasî, mirov dikare helalîya malekî li cihê ku ew lê tê serfkirin binêre û bibîne.*

*Manewîyata însanî bi zehfî di bin tesîra du tiştan de ye:*

*Helal-bûn, bişubhe-bûn, yan jî heram-bûna xureka wî.*

*Şexsîyet û karektêra kesên ku ew bi wan re dibe.*

# DI ÎNFAQÊ DE ÎXLAS

**Îxlas**; di evdînîyê de semîmîyet û paqijîya nîyetê ye. **Teqwa** û **îxlas**, sirrên evdînîyê ne, ku ji hev cuda nabin. Ew herdu her wekî ku îfadeya heman maneyê ne, lê bi şekl û awayên cuda cuda. Di qelb de hevdîtina evdî bi Rebbê wî re, wate tecellîbûna sifetên cemalî yên wekî merhemet, şefqet, efûkarî û helîmtîyê di qelbê wî de ye. Di qelbê xwe de hevdîtina evdî bi Rebbê xwe re, maneya wê ev e ku mûmîn, di her halê xwe de, di her bizava xwe de, heta di her hilm û nefesa xwe de li riza'ya Cenabê Heq bigere.

Ew dilên ku ji îxlasê mehrûm bin, destpê dikin ji menfîetên nefsanî re ram dibin. Nuqta nîhaî ya vê rambûnê jî, çendan bi qelb be jî hemaqeta evdbûna ji ğeyrê Xuda re ye. Çawa Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Ma te ew kesê ku hewa** (û hewesên xwe) **ji xwe re kirine îlah dît?** (Resûlê min!) **Ma tu dê ji wî re bibî wekîl?**" [182]

Mezinê me Pêğember jî di bara sersebeb-bûna kêmasîya îxlasê di amelan de ji bo xusraneke hezîn de wiha îfade dike, dibêje:

"*Di bara ummeta xwe de tişta ku zehf jê ditirsim; şirk çêkirin e. Ez bi vê peyva xwe qesd nakim ku ewê Heyvê, yan Taverojê, yan jî pûtan biperêsin. Esil tişta ku min ditirsîne, ew amel û şehwetên*

182. Furqan, 25/43.

*bi dizîkahî (hestên rîyakarîyê) ne, ku ew ji bo ğayeyên li derveyî riza'ya Xuda, bikin.*" [183]

Naxwe ew îbadetên ku ji bo ğayeyên li derveyî rizaya îlahî û ji bo merezên qelbî yên wekî rîyakarî û şanîdanê têne bicihanîn; amelên feyda wan zayî bûye û ji geometrîyeke nav-vala û ripûreş îbaret e. Lewra di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Amel, bi nîyetan e.*" [184]

Di îbadetê înfaqê de îxlas jî ev e; mirov di nav hesssasîyeta sedeqe pûç nekirinê de; "hesbeten lîllah" wate sirf bi qesda rizaya Heq bide. Wate mirov karibe tişta ku dide jî bi hesta rasterast teqdîmkirina wê ji bo destê qudreta Xuda bide.

Mezinê me ferman dike, dibêje:

"*Her sedeqa ku ji malê helal hatibe dayîn, Xudayê Rehman wê bi destê (qudreta xwe) werdigre û qebûl dike.*" [185]

"*Hîç şubhe nîn e ku sedeqe, berî hewcedar wê bigre, ew pêşî dikeve destê "qudreta) Xuda.*" [186]

Wate, di înfaqê de esl mûxateb, Ellah Teala ye. Ji lewma îcab dike ku di înfaqê de mirov di nav wecdeke kûra dilî de bibe. Îcab dike ku mirov karibe ji mirok û fanîyan ti îltîfat û tebrîkekê çavnêrî neke. Mirov karibe ji rîyakarî, şohret û şanîdanê dûr bisekine. Mirov karibe nefsê nexe navberê. Mirov karibe meqsedeke dinyewî nexe dilê xwe û bibêje: «**Ya Rebbî, sade û sade ji bo Te**» û înfaqê bike. Di înfaqê de esasê îxlasê ev e.

183. Îbnû-Mace, Zuhd, 21.
184. Buxarî, Îman, 41.
185. Mûslim, Zekat, 63.
186. Mûnawî, Kunûzû'l-Heqaîq, rûp. 34.

## ELAMETÊ ÎXLASÊ: PEYDAKIRINA HEWCEDARÊ HEQÎQÎ YE

Edebeke mûhîma înfaqê ev e; mirov hewl bide sedeqê bide yê zehf jê re layiq be. Yanî mirov hema wê ji stûyê xwe neke û bi rasthatinî înfaqê neke. Çawa di vê ayeta han: “**Ew in ku failîyetê dikin ji bo zekatê bidin**.” [187]de îşaret pê hatiye dayîn. Divê mirov karibe bi wecda îbadetê, kedeke ciddî serf bike û bide yê ehl û mûsteheq ji bo heq tam cihê xwe bibîne.

Em bi xwe, dema tiştekî bi qîmet bikirrin çawa îtînayê şanî didin û li serê lêkolînê dikin, divê em bi aynî îtîna û hessasîyetê bi zemanê xwe û keda xwe bidin û emanetî bigihînin sahibê heqîqî yê wî. Lewra înfaq, kirrîn-firotineke manewî ya wisa ye ku mirov di vê alema fanî de hinek ji wan derfetên ku Xuda lutf kirine dide û di şûna wan de li alema ebedî ji bo xwe nîmetên bêdawî dikirre. Ji bo mirov karibe vê kirrîn-firotinê bi awayekî zehf bi bereket bike jî divê mirov li hewcedarê heqîqî bigere, wî bibîne û bide wî. Ev di aynî zemanî de dereca îxlasa di dilê yê ku înfaqê dike de jî, şanî dide.

Di ayeta pîroz de ferman li înfaqkarî tê kirin ku li hewcedarê heqîqî bigere, wî bibîne û sedeqa xwe bidiyê. Ayet wiha dibêje:

“**Bila hinek ji sedeqeyên we ji bo wan xizanan bin ku xwe ji bo rêya Xuda bexş kirine, ji lewma nikarin** (ji bo bazirganiyê) **li ser erdê bigerin. Ewê ku bi rewşa wan nizane, ji ber nefpakîya wan, wan dewlemend zen dike. Tu wan bi rûdêmên wan nas dikî.**” [188]

187. Mûmînûn, 23/4.
188. Beqere, 2/273.

Yanî dema înfaq xalîsane be, di înfaqkerî de riqqeteke qelbî û hessasîyeteke wisan çêdibe ku ew pê karibe hewcedarê heqîqî ji rûdêmên wî nas bike.

Di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Feqîrê heqîqî ew kes e ku wî tiştek nîn e, pê îhtiyaca xwe temîn bike, ti kesekî ku ji halê wî fehm bike jî li hemberî wî dernakeve ku arîkarîya wî bike, (digel vê jî) ew tiştekî ji xelkê naxwaze.*" [189]

**Hezretê Mewlana** her wekî ku ji van heqîqetan îlham distîne û wiha şîret dike, dibêje:

"*Li kirrîna dil binêre; ji bêqewetan re xizmetê bike! Lawazan û dil-şikestîyan biparêze! Ew kesên wisan e ku hîç ti dahateke wan ji xelkê nîn e. Digel vê jî ew tam bi hizûreke qelbî, tewazû û di nav şikestinê de dimînin û wilo diçin. Li wan bigere û bibîne!*"

Ha fezîleta eslî ev e; mirov karibe bi destê hewcedarî bigre. Yanî ewên ku ji xwestinê şerm dikin û halê xwe vedişêrin, fermaneke Rebbê me ye ku xwediyê teqwayê li wan hewcedaran bigere û wan bibîne û em naskirina wan ji rûdêmên wan jî ji bo xwe bixin hessasîyeteke qelbî. Bêşiwar karîna qezenckirina vê hessasîyetê bi qasî helalîya malî û rêjeya îxlasa di dilan de mûmkin e.

Ew înfaqa ku ji malê helal, sirf ji bo riza'ya îlahî û ji dil û can hatibe kirin, bi destûra Xuda ew zayî nabe, Xuda wê ji bo kesên ehl dike nesîb.

Di rêya Xuda de arîkarîya ji bo însanekî wesfdar jî, carina ew ji hezaran însanan re dibe bedel. Lewra heke hûn hemû derfetan li pêşîya xwedî amadekarîyên mezin raêxin, ew îsraf nabin.

189. Buxarî, Zekat, 53.

Mezinê me jî bi awayekî xusûsî bi “**Eshabê Suffe**” re elaqedar dibû û mûmînên dewlemed teşwîq dikirin ji bo malê xwe li ser wan înfaq bikin. Eshabê suffe, ew sehabîyên feqîr bûne ku xwe di rêya Xuda de kiribûne weqf.

Dostê Heq **Hezretê Mewlana** jî bala me dikişîne ser ehemmîyeta înfaqkirina malê xwe li ser hewcedarên heqîqî û wiha dibêje:

“*Edalet çi ye? Avdana dara fêkî ye. Zulm çi ye? Avdana strîya ye...*”

Naxwe şert e ku em diqqet bikin ka înfaqên me bexçên rûhanîyetê şîn dikin, yan jî strîyên nefsanîyetê şîn dikin?

Bihayê înfaqê bi qasî helalîya mal e. Ew xêrên ku ji malên helal tên kirin -bi lutfa Xuda- ji bo kesên jê re layiq dibe nesîb. Ji vê hêlê ve înfaq, di mahîyeta rontgena (tîrêj-wêneya) qezenca manewî de ne.

Çawa şagirtekî zengîn ê ku bi ticaretê re meşğûl dibû hate cem dostê Heq **Ebû Ebbas Nihawendî**, jê pirs kir, jê re got; ez zekata xwe bidim kê wê mûnasibtir bibe? Wî jî jê re got:

“-Dilê te qerarê bi dana kê bide, tu bide wî!”

Şagirt ji cem seydayê xwe derket, li ser rêya xwe korekî gerhok dibîne. Dilê wî pê dişewite. Kîsikek ji zêrên xwe yên zekatê derdixe û dide wî. Ewê kor destên xwe wiha dide kîsik, bi keyfxweşî ji wir vediqete û diçe.

Roja piştre jî şagirt di heman rê de diçe, dibîne ku wa ye ew kor, bi korekî din re diaxive. Van hevokan jê dibihîze:

“-Doh begzadeyekî tam kîsikek zêr dane min. Ez jî çûme meyxanê û min sipehî dem kir (min bi vexwarina meyê dilê xwe rehet kir)..”

Ev rewş, şagirtî zehf dilteng dike. Rasterast berê xwe dide û diçe hizûra Hezretê Ebû Ebbas. Dema ew dike ku hadîsê tam jê re erz bike, Hezretê Ebû Ebbas firsenda axaftinê nadiyê, axçeyekê (diraveke zîvî ye) jê re dirêj dike, didiyê ji bo wê înfaq bike. Ew axçe hemberê kumekî wî bû, wî kumê xwe pê firotibû. Ew tenbih lê dike ku kî pêşî derkeve ser rêya wî, wê bide wî.

Şagirt nikare tiştekî bibêje, ji wir dertê ji bo wezîfa jê re hatî dayîn bîne cih. Wekî lê hatibû tenbihkirin jî, ew wê axçê dide kesê ku pêşî derdikeve pêşîya wî. Lêbelê bi meraqeke ku nava wî dilteng dike, dikeve pey taqîba wî şexsî. Ew mêrik diçe nav xirbeheke biçekê ji wir biwêdetir. Piştre ji bin cilên xwe kewekî mirî derdixe û diavêje erdê. Dema wî dikir ku ji wir derkeve şagirt çû pêşîya wî û jê pirs kir:

“-Ey agît! Ji bo Xuda rast bibêje, ev çi hal e! Ev kewê mirîyê ku te avête erdê çi ye?”

Mêrik dema wî şexsê ku axçe dabûyê li hemberî xwe dibîne, ji kelecanê dibe keke-keka wî û van dibêje:

“-Ev bû heft roj in ku min tiştek peyda nekiribû bibim bidim zarûzêçên xwe. Min û hevjîna xwe sebr dikir lêbelê tehemmula zarokên me ji birçîbûnê re nemabû. Digel vê jî parsekî ji însanan kirin ne karê min e, ez hîç nikarim wî karî bikim. Dema ez di nav vê êş û janê de dihejîyam, wekî te dîtî min ev kewê mirî yê rizîyayî dît. Bi sebeb zerûretê minê ew ji zarokên xwe re biribana ji bo wan bixwin. Ez di dilê xwe de jî li ber Xuda digerîyam, min nîyaz jê dikir û min digot: «Ya Rebbî, înayetê li halê min bike!» Vêca tu derketî pêşîya min û te ew axçe dane min. Min jî ji Rebbê xwe re şukr kir, min ev kewê mirîyê ku nayê xwarin avêt ser vê sergoyê. Ezê vêga biçin sûkê û bi axçeyên ku te dane min hinek tiştên xwarinê bikirrim..”

Şagirt ji vî halê wî re şaş û metel ma, derhal çû cem Hezretê Ebû Ebbas. Hezretê Pîr, hê wî tiştek negotî, jê re wiha got:

“-Ewladê min! Maneya wê te diqqet nekiriye ka tiştekî bi şubhe, yan jî heram tevlî qezenca te bûye, yan jî nebûye. Ji lewma digel ku te li hewcedarê dayîyê diqqet kir jî zekata te ji bo şerabê çû. Lewra tiştên ku tên qezenckirin, ji kuderê û çawa hatibin qezenckirin bi şeklekî wisan ji dest jî diçin. Çawa li hemberî kîsikek zêrên te axçeyeke tenê ya min ketiye destê însanekî salih, ji helalîya wê ye.

Naxwe çêdibe, mirov karibe sedeqa xwe bide kesên ehl, lê ev jî bi qezenckirina me ya wî malî re têkildar e, ka me ew ji kîjan rêyan qezenc kiriye. Her wekî ku di diravan de li gorî keyfîyeta hatin qezenckirina wan qanûneke cezb û îctîzabê carî (derbasdar e) ye. Dirav wekî mar e; ew di kîjan qulê de hatibe di aynî qulê re diçe jî. Naxwe qezenca helal, ji bo xêr û fezîletan dibe wesîle, qezenca heram jî di rêyên şer û xirabîyê de dihele û diçe. Li ser vî esasî, mirov dikare helalîya malekî li cihê ku ew lê tê serfkirin, binêre û bibîne.

Rewşa manewî ya înfaqê, bi şeklekî zehf bariz xwe dîyar dike. Ew xêrên ku bi bexşên hinek mirovan tên kirin, hizûreke cipûcuda dide dil jî, helalîyeta diravan û semîmîyeta dilî şanî dide.

Li alîyê din, di dînê me de dana sedeqan di her firsendê de tê teşwîqkirin. Heke em bi îxlas vê wezîfê bînin cih, Cenabê Heq wê bereketeke cihêwaz ji me re îhsan bike. Wisa ye ku hinek caran ew sedeqa hatiye dayîn xuya dibe ku çûye ketiye destê mirovê jê re ne layiq jî lêbelê; bi lutfa Xuda ewê bibe wesîle ji bo mirovê ew wergirtiye ji ğefletê şîyar bibe û di dilê wî de ber bi xêrê ve temayulên mûsbet zîğ bidin û şîn bibin..

**Resûlê Xuda** vê heqîqetê îşaret dike û di hedîseke şerîfa xwe de îfade kiriye, daye zanîn; di wextê xwe de mirovekî nîyeta xwe lê

anîbû ku sedeqeyekê bide. Ew di reştarîya şevê de bêagahîya xwe diçe sedeqa xwe dide dizekî. Ew şeva duduyan jî diçe sedeqa xwe bêagahîya xwe dide fahîşeyekê. Ew di şeva sisêyan de jî sedeqa xwe bêagahîya xwe dide zengînekî. Xelk jî bi vê bûyerê dihese û bi îfadeyên tije heyret wî zilamî tenkîd dikin, eybdar dikin. Lêbelê ew zat bi bereketa îxlasa xwe ya di înfaqê de di xewna xwe de ji van peyvan re dibe mûxateb:

"*Ew sedeqa ku te daye yê diz, belkû ewê wî ji dizîya ku dikir bide şermkirin û wî jê vegerîne. Fahîşe jî, belkû ji xirabîya ku dikir, poşman bibe, jê vegere û bibe jineke bi îffet. Zengîn jî belkû îbret ji vê bigre û ji malê ku Xuda daye wî (hinekî jê) li ser hewcedaran belav bike.*" [190]

Em hikmet û heqîqeteke wekî vê jî di vê bîranîna warisê Pêğember, dostê Heq Hezretê **Mehmûd Samî Remezanoğlû** de dibînin:

Di esnaya rêwîtîyeke Anadolê de li Urgupê kesek otomobîlên wan vedigerîne û ji Hezretê Pîr, perê çiğarê dixwaze.

Digel mûxalefeta hinek hevalên wî jî Hezretê Samî Efendî dibêje; "Madem dixwaze, divê em bidinê." Hîç nahizire û di navbera nêrînên sergêjane yên hevalên xwe de pereyên ku wî zilamî xwestin jê re dirêj dike û dide destê wî.

Ew feqîr bi keyfxweşî radije wan, ji nişka ve nîyeta xwe diguherîne, dibêje; "ezê vêga biçim bi van, nan bikirim." Û ew ji wir diçe.

Ha sedeqekeke ku bi îxlas ji bo Xuda hatiye dayîn, tesîreke mûsbeta wiha di mûxatebê xwe de anîye meydanê!..

Ji lewma **Şêx Sadî** van îqazan dike, dibêje:

190. Li Buxarî, Zekat, 14; Mûslim, Zekat, 78'an binêrin.

“*Lutf û îhsanê nexe nav kîsekî û devê wî girênede! Îhsana xwe ji ber ti kesî negre! Nebêje; ev rîyakarî ye, ya din hîlebazî ye! Bila bidin, bila wisan be, ji vê, ji te re çi!?*”

## HEKE NÎYETA TE XALIS BE, HEQ BEREKETÊ LUTF DIKE

Cenabê Heq, yê ku nîyet xalis be, hindika wî pirr dike. Bi sebeb xêreke biçûçika wî, bendeyê xwe ji bo mûkafatên mezin naîl dike. Ji lewma dirhemeke ku bi îxlas hatibe dayîn, ji hezaran dirhemên ku bêdil hatibin dayîn bi qîmettir e.. Yanî pirrbûn û hindikbûna mebliğê ku hatiye înfaqkirin ne mûhîm e, Lêbelê ya mûhîm ev e; gelo çend ji îmkanên ku hene, çi qeder ji dil û bi nîyeta xalis hatiye dayîn yan na.

Lewra di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

“*Nîyeta (meqsed û îxlasa) mûmînî, ji amelê wî çêtir e.*” [191]

Ji vê hêlê ve, heke nîyet xalis bibe, qencîyeke biçûçik jî mezin dibe. Înfaqên ku bi îxlas hatibin kirin, ji gunehan re dibin kefaret.

Wekî ku Mezinê me **Resûlê Xuda** daye zanîn; jineke gunehkar hebûye, av dabû sekekî ku ji têhna dikir helke-helk, ha sirf bi sebeb vê merhemeta wê Xuda gunehên wê efû kiribûn û ew ji bo cennetê naîl kiriye. Li hemberî vê jî jineke îbadetkar hebûye, li hemberî kitikekê bêmerhemetane tevgerîyabû û giringî bi birçîbûna wê nedabûye, ji lewma Xuda ew jî ji bo cehennemê dûçar kiriye. [192]

Ji ber vê sedemê, ji bo mirov karibe bibe mûmînekî kamil, îcab dike mirov di rêya riza’ya Cenabê Heq de bi nîyeta xalis ğeyret bike, xêr çi mezin be, çi biçûk be, mirov ferqê nexe navbera wan û

191. Suyûtî, Camîus-Seğîr, II, 194.
192. Li Mûslim, Selam, 151-153.

dilê mirov di kirina her xêrê de hebe. Heta divê mirov asoya înfaqê ji însanan biwêdetir jî fereh bike, ji bo ew heywanat û nebetan jî bide ber xwe û divê mirov terzê nêrîna merhemeta Xaliqî ya li mexlûqatan qezenc bike.

Yek ji mûhîmtirîn tezahurên bereketa înfaqa ku bi îxlas hatibe lutfkirin jî ew emrê xizmetê ye ku ji bo dezgehên xêrê hatine bi nesîbkirin. Ew dezgehên ku ji malê helal û bi îxlas hatibin damezirandin, ew bi qasî sağlemîya havênê manewî yê di bingeha wan de emr-dirêj dibin.

Di vê xusûsê de kullîya Suleymanîyê ku bi sed salan e rûhanîyetê tevlî asîmanê Stanbûlê dike, yek ji mîsalên bêjimar e. **Qanûnî Siltan Suleyman** ew kullîye daye avakirin, ew di bara evdan de zehf ditirsîya û hewl dida bibe xelîfekekî adil. Şeyxûlîslam **Ebûssuûd Efendî** kevirê pêşî dixe bingeha wê, bi vî awayî destpê dike heta avahîya wê temam bû, qanûnî ji avasazê wê bigre heta bi karkerên wê herkes kom kirin. Piştî ji Cenabê Heq re hemd kir, piştre dest bi axaftina xwe kir û got:

"*Gelî bira-dînên min! Ev mizgefta şerîf bi destûra Xuda hatiye temamkirin. Çi bi şaşî be, çi jî bi jibîrkirinê be, heke yekî ku heqdesta xwe nestandibe, yan jî heqê wî hatibe xwarin hebe, bila were, heqê xwe bistîne! Dibe ku ew kes ne li vir be. Rica'ya min ji mirovên li vir; bila ji wan re bidin zanîn! Bila ew jî werin heqê xwe ji me bistînin!..*"

Ji bo heywanên ku di avahîya Kullîyê de hatibûne şiğulandin jî programek hatibû çêkirin; li saeta bêhnvedan û çêrandina hesp, ker û hêstiran a li nav mêrgan jî hatibû diqqetkirin û ğeyreteke ezamî hatibû şanîdan ji bo heqê ti candarekî neyê binpêkirin. Naxwe hikmeta bingehîn ji bo xwedî-sirr bûn û xwedî rûhanîyet-bûna Mizgefta Suleymanîyê ev e ku di avakirina vê mabedê de ev qeder bi titîzî heqê însan û heywanan hatiye rîayetkirin..

Avakirina vê kullîya mûezzam, bi destê Sînan ê şexsîyetê zirweya dahîtîya avasazîyê hatiye bicihkirin. Ew avasazê dil-derwêş zehf diqqet kiriye ji bo bêdesmêj keviran li cihê wan nedeyne. Ev peyvên li ser zimanê xelkê belav bûne îfadeya heqîqetê bi xwe ne:

"*Sahibê Suleymanîyê Siltan Suleyman e, avasazê wê Sînan e, hevîrê wê îman e...*"

Qanûnî di rêwresma vekirina Mizgeftê de qedrnasîyeke mezin şanî da û got:

"*-Bila Sînan vekirina vê mabeda mezin bike! Lewra keda wî têde ji ya herkesî zehftir e!.*"

**Mîmar Sînan** jî ji Xunkar re got:

"*-Siltanê min! Dema **Xettat Qarahîsarî** ev mizgeft bi xetên xwe tezyîn dikir çavên xwe jidest dan, nebîn bû. Em vê şerefê bidin wî!..*"

Mabeda mezin bi fezîletên wiha hatine jîyan, ew ji bo teltîfê bi Qarahîsarî dane vekirin.

Di Mizgefta Suleymanîyê de rûhanîyeta îbadetî tevlî mîmarîyê bûye. Nava wê nîv-rohnîyeke ku tarîtîya wê nîn e. Ew mûmînî, di nav kelecaneke dilî de dibe alemeke derûnî. Ew her wekî ku avekê be û li serê hatibe xwendin. Ax û kevirên wê mane qezenc kirine. Ev mabed, xuyabûna Îslamê bi uslûbeke ulwî di maddê de ye. Ew her wekî însanekî huşbûyî ye ku bi huşbûna xwe gellek tiştan vedibêje.

Atmosfera manewî ya di hundurê mizgeftê de wê tesîra ku di haletê rûhîyê însanî de îcra dike, zehf bariz û xuya ye. Gellek tûrîstên ji olên cuda cuda ku têne serdana vê mabeda abîdewî jî bi cazîba rûhanî ya ku lê rast tên, di nav hizûr û sikûnê de bêhna rûhê xwe berdidin.

Bereketa çi înfaqeke xalis e ku ev berhem kêm-zêde ji pênc sedsalan ve digel lê qewimîna çendîn zelzelan jî rip û rast li ser

pêyan rawestîyaye, axa welatê me bi zarafeta hunerê Îslamê distire û kumbeta asîmanê me jî ji dengên banga şerîf tije dike. Bêşiwar ev bextiyarî, bereketeke wisa ye ku Cenabê Heq ew ji îxlasê re lutf kiriye.

## BILA YA KU DESTÊ RASTÊ DABE, DESTÊ ÇEPÊ WÊ NIZANIBE...

Dilên ji îxlas mehrûm bin, xêrên wan ên ji merezên wekî rîya û şanîdanê şîlo jî ti qîmetekî îfade nakin. Di vê xusûsê de mezintirîn tehlûke ev e; ewên ku înfaqê dike, parekê jê bike aîdê nefsa xwe, yan jî ew xêra ku kiriye bi hizra menfîetên fanî sihê bîne serê. Bi tesîrtirîn rêya xilasbûna ji van merezên qelbî yên ku îxlasê tine dikin û ecrê zayî dikin jî "**rîayetkirina bi dizîkahîyê**" ye.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Heke hûn sedeqeyên xwe** (zekat û xêrên wekî wê) **eşkere bidin, ev tiştekî rind e! Heke hûn wan veşêrin û bi dizî bidin xizanan, ha ev ji we re hîn çêtir e. Xuda jî, dê bi sedem vê hinek gunehên we veşêre. Xuda, ji ya ku hûn dikin, agahdar e**." [193]

Yanî ewê ku bi dizîkahî înfaq dike Xuda jî eyb û qusûrên wî setr dike. Înfaqeke wiha, çawa ji bo gunehan dibe kefaret, aynî wisan ew însanî ji mûbtelabûna kibrê xilas dike û nahêle ecra wî zayî bibe.

Pêğemberê Xuda di hedîsa şerîf de dibêje:

"*Ew amelê ku însan bi dizîkahî dike, Xuda Teala mûkafata dizîkahîyê jê re dinivîse. Heke ew vî amelî eşkere bike, ew mûkafata*

193. Beqere, 2/271.

*wî jî li ser beşa amelên eşkere dinivîse. Heke ew tişta ku kiriye bibêje, ew dem amelê wî dikeve deftera rîyayê.*" [194]

Yanî bi awayê daxuyandina ayetên pîroz û hedîsên şerîf, ewê ku karibin înfaqa xwe bi dizîkahî bikin, ew kesên bextiyar in ku gunehên wan têne efûkirin û di dema dehşetdara qiyametê de jî dikevin bin siha Erşê Xuda. [195]

Lêbelê mirov dikare bihizire ku bi eşkerehî înfaqa xwe bike û wê ji însanan re jî ragihîne. Bi vî awayî mirov, wê xelkê ji bo kirina xêrê teşwîq bike. Çawa mûfessiran jî ev ayeta ha:

"**Heke hûn sedeqeyên xwe** (zekat û xêrên wekî wê) **eşkere bidin, ev tiştekî rind e! Heke hûn wan veşêrin û bi dizî bidin xizanan, ha ev ji we re hîn çêtir e.**"[196] wiha tefsîr kirine; bila mirov bi qesda teşwîqkirinê zekata xwe eşkere bide, sedeqe û xêr û hesenatên din jî bi dizîkahî bide.

**Welhasil,** li ser mijara 'gelo bila xêr bi dizîkahî, yan jî bi eşkerehî werin kirin' ev alenîyet û xefîyet li gorî rewş û şertan diguhere. Heke berraqîya nîyetê di qelb de were mûhafezekirin, ğem nake mirov dikare bi eşkerehî jî înfaqê bike. Heta ku îhtiyac pê hebe, ji bo teşwîqkirina mirovan li ser kirina xêran bila mirov vê rê tercîh bike. Fezîlet û esasê herdu cure înfaqan jî; parastina qelb ji rîyakarî û şanîdanê û mûhafezekirina teqwa û îxlasê ye.

Bi eşkerehî dana sedeqan, dibe ku hesta heyayê di mirovên ku wê werdigrin de zeîf bike, zeîfbûna hesta heyayê jî bi derbasbûna zemanî re ewê bibe sebeb ku ew çavnêrîna sedeqan ji xwe re bixe adet, ev jî wê bibe sebeb ku di wan de ğeyret û ezma xebatê berze bibe.. Ji bilî vê jî di înfaqa ku bi awayekî alenî were kirin de

194. Îhya, I, 595.
195. Li Beqere, 271; Buxarî, Ezan, 36'an binêrin.
196. Beqere, 2/271.

jî îhtîmal heye ku ewê sedeqê dide ber bi kibr û quretîyê ve were kişkişandin û ew xwe biecibîne, her wiha îhtîmal zehf heye, ewê ku sedeqê werdigre jî pê rencîde bibe. Di rewşên wiha de bi dizîka înfaq-kirin mûnasibtir e.

Çawa **Hezretê Ûmer** bi şevê çiwalê ard li ser pişta xwe dikir, li taxên feqîran digerîya, xwe şanî ti kesî nedida, heta di pirrê zemanî de xwe nedida naskirin û wilo hewcedar keyfxweş dikirin.

Nevîyê Hezretê Elî **Hezretê Îmam Zeynelabidîn** jî her şev çiwalên erzaq li pişta xwe dikirin û dibirin li ber derîyê feqîran didanîn, xwe şanî ti kesî nedida û wilo vedigerîya. Sibehekê wan feqîran dît ku wa ye erzaq li ber derîyên wan nehatiye danîn. Dema wan sebebê wê meraq dikir, xebera wefata Hezretê Zeynelabidîn li temamê Medînê belav bû. Herkes di matemeke kûr de noq bû.

Dema naaşê Hezretê Zeynelabidîn dihate şûştin di pişta wî de peqpeqonkên avê çêbûbûn û birînên mezin têde dîtin. Dema wan sebebê vê ji lêzim û nêzîkên wî pirs kirin, sirra wî zatê mûbarek jî derket holê. Lewra ew birînên di pişta wî de bi sebeb çiwalên erzaq ên ku li pişta xwe dikirin û ji feqîran re dibirin hatibû meydanê. [197]

Ha ev e tecellîya îxlasê di dilê mûmînên tije merhemet de û ev e hessasîyeta mezin ji bo pûçnekirina ecra xêrê bi îltîfatên beşerî!..

Bav û kalên me jî sipehîtirîn nimûneyên van hessasîyetan raxistine. Çawa di weqfîye-keke **Fatîh Siltan Mehmed Xan** de ev îfadeyên ha, di vê xusûsê de zehf caliba diqqetê ne:

“Ezê ku fatihê Stanbûlê me, bendeyê nekare’yê Xuda, Fatih Siltan Mehmed; min 136 dikanên xwe yên ku min bi xwêhdana enîya xwe xistine ber milkê xwe, di mûwaceha van şertên jêrîn de kirine weqf:

197. Li Îbnû-Kesîr, el-Bîdaye, IX, 112, 122; Ebû Nûeym, Hîlye, III, 136’an binêrin.

Min aşxaneya ku di kullîya xwe de înşa û ava kiriye bila têde ji bo jinên şehîdan, sêwîyên wan û feqîrên Stanbûlê xwarin were çêkirin! Lêbelê bila xwarin, ji bo uzrmendên ku nehatibin xwarinê, yan jî nikarîbin werin xwarinê wergirin, piştî ku hewa tarî bû, di nav firağên derxwîn-girtî de bi awayekî ji ber çavan dûr, ji bo malên wan were birin!..”

Wekî ku di weqfîyê de hate dîtin Fatih Siltan Mehmed Xan, ji bo takekesên ku di nav civakê de îhtiyaca wan bi parastinê heye bi hessastirîn endazên edeb û nezaketê qaîde danîne.

Dîsa di serdema bav û kalên me de li mizgeftan kevirê zekatê hebûn. Wan zekata xwe dixistin zarfekê û zarf jî dibirin di kevirê zekatê de didanîn, bi vî awayî şahesereke înfaqê raxistine. Bi vî awayî, ne mirovê ku zekat distand yê ku ew dabû, didît, ne jî yê ku ew dabû yê ku ew distand, didît. Bi vî şeklî ne dilê yê ku zekat werdigirt diêşîya, ne jî di yê ku zekat dida de temayula xwedbînî û kibrê çêdibû.

**Cenabê Heq me tevan, bixe ji wan bendeyên salih ên xwe ku dikarin îxlasa xwe biparêzin û amelên xwe bi niyeta xalis bicih bînin! Ji rewşa sipehîya sehabe, ewlîya û bapîrên salih ên me, paran ji dilê me re lutf bike!**

**Amîn...**



# Îsar

*Qentara eşq û mehebbetê, fedakarî ye. Însan mezintirîn bedela xwe di ber mehebbeta xwe de didin.*

*Eşqa îlahî, fedakarîyeke rastîn divê. Lêbelê ew jî bi terk-kirina mehebbetên fanî, tê gihiştin. Dema eşq û mehebbet bigihin kemalê, fedakarîya ku di ber hezkirîyê de tê şanîdan jî digihîje zirwê. Ew dem êdî cefa jî dibin sefa.*

*Îzzet û fezîleta mûmînekî ev e; ew karibe berîya hizûr û seadeta xwe, hizûr û seadeta bira-dînê xwe bifikre. Yanî ew ji xwedbînîyê derbas bibe, here dîgerkamîyê û karibe di şûna "pêşî ez" de bibêje "pêşî tu" yan jî "pêşî ew".*

# ÎSAR

**Îsar**, xesleteke xasê pêğemberan û bendeyên Heq, welîya ye ku ew jî ziweya fedakarî û comerdîyê ye. Îsar ev e; mirov ji nefsa xwe fedakarîyê bike, yan jî ji heqê xwe biqere, digel ku îhtiyaca mirov bi xwe jî pê hebe dîsa mirov karibe heqekî xwe, yan jî derfeteke xwe ji bo mûmînekî din dewr bike. Di her halûkarî de mirov karibe berîya hizûr û seadeta xwe, hizûr û seadeta bira-dînê xwe bihizire. Yanî mirov ji xwedbînîyê derbas bibe, here dîgerkamîyê û karibe di şûna "**pêşî ez**" de bibêje "**pêşî tu**" yan jî "**pêşî ew**".

Çawa dema jê hatiye pirskirin: "Înfaq çi ye?" **Hakim Tirmizî** -quddîse sirûh- ev bersiv daye, gotiye:

"*Înfaq; bi keyfxweşîya yê din, hizûr dîtin e*." [198]

Xurttirîn amilê ku dostên Heq ji bo vî exlaqê xweş sewq kirine ev e; fitretên wan bi hevîrê merhemetê hatine stran. Dîsa ji ber vê ye, ew vê peyama îlahî: "**Mûmîn bes biran e**.."[199] bi taybetî di zemanên zor û zehmet de bi heyecana îbadetê tînin cih.

Îsar, zirweya comerdîyê ye. Lewra comerdî, dana malê ji xwe zêde ye, dana yê ne lazim e. Îsar jî ji xwe kêmkirin e û dana mal û tişta ku îhtiyaca mirov pê heye û ew ji mirov re lazim e jî. Naxwe ew serkeftineke rûhanî ye û bi dan huşkirina îtîrazên nefsê û dîwarxistina pêşîya îhtîrasên wê, tê qezenckirin.

---

198. Sadiq Dana, Alyinoluk Sohbetleri, c. 3, rûp. 48.
199. Hucûrat, 49/10.

Rebbê me, di bara vî exlaqê ku xwestiye di bendeyên xwe de bibîne de, di ayeteke pîroz de wiha dibêje:

“**Ew, digel ku îhtiyaca wan pê heye jî xwarinên xwe ji yê feqîr, yê sêwî û yê êsîr re îkram dikin û dibêjin; «em sirf ji bo riza’ya Xuda ji we re îkram dikin. Em ne hemberekê ji we dixwazin, ne jî teşekkurekê ji we hêvî dikin. Em di rojeke dijwar û bi bela de ji** (ezabê) **Rebbê xwe ditirsin.»** **Xuda jî wan ji xirabîya wê rojê diparêze,** (ji rûyê wan re) **nûrê** (ji dilên wan re jî) **sirûrê bexş dike**.” [200]

Înfaq-kirina însanî di dema destferehîya xwe de hêsan e. Lewra înfaqeke wiha, ji ber ku ji malê zêde hatiye dayîn nefsa însanî zehf zêde natirsîne. Esl ya zor ev e mirov, karibe di nav tinebûnê de comerd bibe.

**Hezretê Elî** çi xweş dibêje:

“*Dema malê dinyayê berê xwe bide te, dana wê zanibe! Lewra dayîn, wî xilas nake. Dema malê dinyayê berê xwe ji te vegerîne jî dîsa bide! Lewra ew bi dewamî namîne!*”

Di îsarê de, yanî înfaq-kirina însanî ji bo tiştekî ku îhtiyaca wî bi xwe jî pê heye, sebrkirina li hemberî bablîsokên îtîrazên nefsê û fedakarî-kirina bi riza û teslîmîyetê mewzûbehs e. Ev jî ne xerca her agîdî ye. Şanîdana vî exlaqî, kamilbûneke manewî, paqijîya qelbî û safîyeta rûhî dixwaze.

Ecra her xêrê, bi qasî zorbûna wê ye. Ji vê hêlê ve ecra îsarê jî, ji înfaqên din mezintir e. Ji lewma dostên Heq qezenca manewî ya vî exlaqî ğenîmeteke bêhempa wergirtine. Ji bo ew karibin li axretê bigihîjin seadet û selteneta wê, li alema fanî bi awayê “**ji feqîrîyên Atirse**” înfaq kirine û ji bo zengînîya dil, naîl bûne.

200. Însan, 76/8-11.

Dostê Heq **Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

“*Heke pelên çinarekê biweşin, Cenabê Heq, hêza jîyîna bê pel jî dide wê. Heke ji ber comerdîyê mal di dest te de nemîne, ma înayeta Xuda hîç te di bin lingan de diperçiqîne?*”

Naxwe îsar ev e; mirov karibe risk wergire û mal bide. Îsar ev e; mirov karibe mehrûmbûnê, birçîbûnê raçav bike û karibe malê di dest xwe de ji bira-dînê xwe re îkram bike, bi vî awayî mezinbûna xwe şanî bide. Îsar ev e; ji nefsê re çi qeder giran tê jî, bila were dîsa mirov karibe rûyê xwe tirş neke û bi dil-xweşîya xwe malê xwe înfaq bike.

## JI HER NÎMETÊ ÎSAR

Îsar, ne fedakarîyeke sirf xasê peran û mal e. Ellah Teala çi ji me re îhsan kiribe, em karibin rehetî û menfîeta xwe bi xwe bavêjin plana paş, em liğabê li nemerdîya nefsa xwe bixin, em zorê li şert û derfetên xwe bikin, em karibin wan di rêya Xuda de înfaq bikin. Yanî îsar ev e; mirov karibe bi awayekî “**fedakarane**” ji hemû nîmetên maddî û manewî, ji qabilîyet û îstîdadên xwe, ji îlm û îrfana xwe înfaq bike. Ev jî mûmkin dibe, heke îsar di qelb de bibe hessasîyet.

Mesela divê mûallimekî Qur’anê nebêje; “ma min çi îmkan hene heta ku înfaq bikim?” Tam berevajî vê bila ew îmkana xizmet-kirina ji bo Qur’anê ku Xuda jê re lutf kiriye ğenîmet zanibe, bila fedakarîyê ji zemanên îstîraheta şexsî ya xwe bike û li ser kirina xizmetên xwe dewam bike. Di vê rewşê de ew jî dibe yek ji ehlê îsarê.

Dema Mezinê me Fexrê Cîhanê li Taîfê Îslam teblîğ dikir, mirovan kevir avêtibûne wî. Lêbelê mislimanbûna koleyekî li wir kul û kedera wî sivik kir. Ew piştî vê rêwîtîya bi êş û jan, hê bêhna

xwe ber nedabû, çû cem êlên mûşrikan ên ku ji bo heca cahilîyetê hatibûn. Ji wan re terora ku qewmê wî li dijî mûmînan dimeşand ji wan re vegot û ev jî ji wan re got: "*Min bibin nav qewmê xwe, ezê teblîğê ji we re bikim*." Ew li ser navê bicihanîna teblîğê ji êşekê ber bi êşeke din ve çû. Wî rehetî û îstîraheta xwe jibîr kir. Lewra Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Naxwe dema tu ji karekî vala bibî derhal xwe ji bo karekî din raçikîne û berê xwe bes bide Rebbê xwe**." [201]

Naxwe ji bo ğeyretên bêjimar ên ku di rêya Xuda de werin kirin, heke em karibin fedakarîyê bikin ku bihayê wê terka rehetîya me be jî -Xuda hez bike- hingê emê jî bibin ji ehlê îsarê.

## REWŞA ÎSARÊ YA RESÛLÊ XUDA Û ESHABÊN WÎ

Wekî ku di her xusûsê de wisa ye, di mijara îsarê de sipehîtirîn nimûneya me Mezinê me Pêğember û eshabê guzîde yên wî ne, ku ew jî di bin terbîya nebewî ya wî de perwerde bûne û gihane.

Kî çi ji Mezinê me **Resûlê Xuda** xwestibe, nehatibûye dîtin ku wî ew destevala bi şûn de şandibe. Dema tiştek jê dihate xwestin, heke di wê an û demê de tiştekî wî nebe ku bide jî bêşiwar wî îmkaneke wê her didît û xwe ji înfaqê nedihişt. Çawa rojekê hewcedarek hate balê û tiştek jê xwest. Resûlê Xuda jê re got:

"*-Li ber destê min tiştek nîn e, ku ez bidim te, here li ser navê min bikirre, dema mal were, ezê heqê wan bidim*."

**Hezretê Ûmer** ev bihîst û got:

"-Ya Resûlê Xuda! Heke li ber destê te hebe, tu yê bidî, heke nebe Xuda tişta ku te qewet jê re nîn e, li te bar nekiriye."

201. Înşîrah, 94/7-8.

Ev xebera Hezretê Ûmer li xweşîya Mezinê me Pêğember neçûbû. Yekî ji Ensarîyan got:

“-Ya Resûlellah! Bila dêya min û bavê min bi gorî te bin, bide! Netirse, nebêje; Xwediyê Erşê wê kêm bike!”

Ev xeberên vî sehabeyî li xweşîya Mezinê me çûn. Tebessum kir û got:

“-*Ez jî bi vê hatime emrkirin*.” [202]

Yanî Mezinê me Pêğember ew qeder comerd bû ku dikarîbû peran deyn bike û wilo wan înfaq bike. Ev diltenikî û zarafeta wî di dîgerkamîyê de ku kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wî, ji bo me ummeta wî qistaseke sipehî ya fiêlî ye.

Dîsa kengê şîrek ji Resûlê Xuda re hatibe, wî pêşî ew ji sehabîyên feqîr re ji Eshabê Suffê re îkram dikir. Dema eshabê wî birçî bûn, wî bîra ziktêrîya xwe nedibir. Lewra di nezara wî de şîranî û çêja înfaq û fedakarîyê ji hemû lezzet û şîranîyan xweştir bûye, ew ji tevan çêtir bûye.

Şairek vê rewşa îsarê ya Mezinê me çi bi teşbîheke sipehî îzah dike, dibêje:

“*Heke mirov rojekê di comerdîyê de Te bişibihîne ewran wî di medhê te de xeta kiriye. Lewra dema ewr didin digrîn, lêbelê dema tu didî, dikenî*.”

Dema Mezinê me Pêğember û Ebûbekr wefat kiribûn, ew li oda dêya me Hezreta Aîşe hatibûne definkirin. Li oda wê cihê tirba kesekî tenê mabû, dêya me Aîşe arzû dikir ku wê derê jî ji bo gora xwe bihêle û ew têde were definkirin. Lêbelê dema xencer li Hezretê Ûmer hate xistin û ew bi giranî birîndar bû, wî kurê xwe

202. Heysemî, X, 242.

wek ricaker şand mala dêya me Aîşe ji bo wê derê jê re bexş bike. Dêya me Aîşe ji heqê xwe ferağet kir û wê ew dever ji Hezretê Ûmer re îkram kir.

Dîsa rojekê dêya me Hezreta Aîşe bi rojî bû, xizanek hatibû balê tiştekî xwarinê jê xwestibû. Li mala dêya me Aîşe ji somûnekî pê ve tiştek nebû, ew jî wê, êvarê li serê îftara xwe bikira. Wê ji xizmetkarê xwe re got, wî somûnî bide wî hejarî. Heke çi qeder xizmetkar îtîraz lê kir jî lê dêya me Aîşe israr kir û ew nan pê da dayîn. Çi dema bû êvar mirovekî perçekek goştê pijandî yê mêşinan şandibû mala dêya me Aîşe. Dêya me Aîşe xizmetkarê xwe bang kir û jê re got:

“-*Kerem bike bixwe, ev, ji wî nanê ku te dil nedihişt bidî bi lezzettir e!*” [203]

Lewra wan baş dizanîbû ku Cenabê Heq, ji evdên xwe comerdtir e û ew evdê xwe yê ku bi îxlas înfaq kiribe di zorê de nahêle. Ew di şûna malê ku hatibe înfaqkirin de yekî çêtir lutf dike. Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Hûn ji bo xêrê çi xerc bikin, Xuda di şûna wî de yekî din dide**...” [204]

Mûmînan qezenca bilinda vê kirrîn-firotina manewî zanîbûn, ji lewma ew ji înfaqkirinê lezzeteke mezin werdigrin.

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

“*Kesê ku qumaş difiroşe, dema dibîne ku qumaşê di dest wî de wê zehf peran bîne, hezkirina wî ji wî qumaşî sar dibe û dixwaze wî di cih de bifiroşe. Lêbelê heke ew nebîne ku qumaşê wî dê zehf peran bîne, ew pêve tê girêdan, naxwaze wî ji dest xwe derîne.*”

203. Mûwette, Sedeqe, 5.
204. Sebe, 34/39.

"*Mal bi sedeqedanê hîç kêm nabe. Bileks (tam berevajî vê) xêr dan, mêl ji zayîbûnê diparêze!*"

Ji sehabîyan **Cabir** îsara Ensarîyan ji bo birayên xwe Mûhaciran wiha vedibêje:

"*Dema Ensarîyan xurmên xwe berhev dikirin, ev dixistin du beş, gellek xurme li alîyekî didanîn, hindik xurme jî li alîyekî didanîn. Piştre çiqilên darên xurman dixistin bin wê pişka hindik, ew zehf şanî didan û ji Mûhaciran re digotin: «Hûn kîjan pişkê bibijêrin, rajinê.» Ew jî dihizirin, di dilê xwe de ji xwe re digotin; bila ew pişka ku zehf dixuyê ji birayên me Ensarîyan re be, ew loda ku hindik dixuya radihiştinê û bi vî awayî dîsa zehfên xurman ji Mûhaciran re dihatin.. Ensarîyan jî bi vê rê, dikirin ku pişka hindika xurman ji wan re dima...*" [205]

Ev çi tevgereke zirav û nazik e ku hatiye raxistin ji bo karibin çêja manewî ya îsarê bijîn!.. Ew rewşa fedakarî û biratîyeke ew qeder ulwî ye ku dikare menfîetên maddî û fanî di plana paş de bihêle...

Dîsa ji sehabîyan **Ebû Ûbeyde bin Cerrah** dema serdarê artêşê bû. Dema ew li çolê bû û ava sar û nanê taze jê re dihat, wî pirs dikir, digot; "gelo ev, bi dest leşkerên min jî dikeve?" Çi dema ew hîn dibû ku ev bi awayekî xusûsî jê re hatiye tedarik-kirin, wî destê xwe nedidayê û gotiye: "Leşkerên min çi dixwin ji wî, ji min re jî bînin." Lewra ew sehabîyê ezîz jî yek ji wan mirovan bûye ku karîne bibêjin; "**pêşî ez**" ne feyda xwe divêm, lêbelê ez feyda pêşî ji bo"**pêşî bira-dînên xwe**" dixwazim.

Xizanek hate cem **Mezinê me Pêğember** û jê re got; ez birçî me. Mezinê me jî xeber ji xanimên xwe re şand û tiştekî xwarinê ji wan xwest. Lêbelê ji hemû xanimên wî heman bersiv hat:

205. Heysemî, X, 40.

“-Qesem bi Xuda ye, li malê ji avê pê ve tiştekî din nîn e.”

Vêca Mezinê me Pêğember li eshabê xwe fetilî û pirs kir; kî dikare vî şexsî bike mêhvan? Di cih de sehabîyek rabû ser xwe û got:

“-Ezê wî bikim mêhvan!” û wî ew xizan bire mala xwe. Halhale ku li mala wî bes bi qasî ku têra zarokê wî bike xwarineke hindik hebû. Wî ji jina xwe re got:

“-Zarokan mijûl bike. Dema mêhvanê me were lempê vetemirîne. Emê jî xwe mijûl bikin her wekî ku em xwarinê dixwin.”

Ew rûniştin ser sifrê. Mêhvanî zikê xwe rind têr dikir. Sibehê jî xweyê malê çû cem Resûlê Xuda. Mezinê me Pêğember jî ew dît û jê re got:

“*-Îşev, bi sebeb îkrama ku we ji mêhvanê xwe re kirî Ellah Teala zehf ji we razî bû.*” [206]

## ÎSARA DOSTÊN HEQ

Dostên Heq ku exlaqê Resûlê Xuda ji bo xwe kiribûn exlaq jî çawa sehabîyan nimûneyên îsarê raxistibûne ber çavan, wan jî wisan çendîn nimûneyên îsarê raxistine ber çavan. Yek ji van jî **Antakyali Ebû’lHesen** wiha diguhêze, dibêje:

“Carekê sih û çend kes li gundekî ji bajarê Reyê nêzîk kom bûbûn. Çorekên wan bi hijmar bûn, têra van tevan nedikirin. Wan çorekên xwe perçe kirin, lempa xwe kwîr kirin û rûniştin ser xwarina xwe.

206. Li Buxarî, Menaqîbû’l-Ensar 10, Tefsîr 59/6’an binêrin.

Piştî mideteke sifre li ber rakirinê bû dema lempa geş bûn, dîtin ku wa ye nanê wan wekî xwe li ser sifrê maye. Lewra her yek ji mirovên li ser sifrê birayê xwe li ser xwe tercîh kiribû û ti kesî tiştek ji çorekan nexwaribû.” [207]

Ha ev e asoya mûmînên ku karîne bigihîjin dîgerkamîyê wiha ye!.. Ev e ku mirov karibe di şûna “**pêşî ez**” de bibêje; “**pêşî ew!**”.

Mîsaleke din ji mîsalên tije îbret ya vî exlaqê xweş jî ya **Hezretê Dawudê Taî** ye:

Şagirtekî wî xizmeta wî dikir, rojekê jê re got:

“-Min piçek goşt pehtiye, ji kerema xwe kerem bikin?” Ji ber ku seydayê wî deng ji xwe neanî, wî xwarin anî. Lêbelê Hezretê Dawudê Taî bes li wê xwarina li ber xwe danî meyzand, pirs kir û got:

“-Çi xebera te ji filan sêwîyan heye ewladê min?

Şagirtê wî di bara ne pir başbûna rewşa wan de jê re vegot:

“-Seydayê min wekî hûn pê dizanine!”

Dostê mezinê Heq got:

“-Naxwe vî goştî ji wan re bibe, bide wan!”

Şagirtê semîmî yê wî, xwarin ji seydayê xwe re hazir kiribû û ji dil û can dixwest ku seydayê wî ji îkrama wî bixwe, ji lewma jê re got:

“-Seydayê min ji mêj ve we jî goşt nexwariye!..” Bi vî awayî şagirtê wî jî israr kir. Lêbelê Hezretê Dawudê Taî daxwaza wî qebûl nekir û jê re got:

207. Îhya, III, 572.

"-Ewladê min! Heke ez vî goştî bixwim piştî mideteke kurt ewê derkeve derve, lêbelê heke ew sêwî wî bixwin ewê heta hetayê bimîne û hilgere, here Erşê Ela!.."

Ji dostên Heq **Hezretê Ûbeydûllah Ehrar** jî wiha vedibêje:

"Ez rojekê çûbûm bazarê. Ez pirr feqîr bûm. Mirovek hate dev min û ji min re got; ez birçî me. Ew dem hîç îmkaneke min nebû. Sade şaşikeke min hebû ew jî bûbû fitîl fitîl. Min ew mirovê birçî bi xwe re bir aşxaneyekê. Min ji aşpêj re got:

"-Raje vê şaşika min. Kevin e, lê temîz e. Tu yê pê firağên xwe ziwa bikî. Di hemberê wê de jî vî birçîyî têr bike?"

Aşpêjî xwarin da wî birçîyî; şaşika min jî dîsa da min. Lêbelê ji ber ku min soz dabû, min nerahiştiyê. Ez jî birçî bûm lê ez sekinîm heta wî birçîyî têr xwar." [208]

Hezretê Ûbeydûllah Ehrar piştre bû xweyê serweteke mezin. Serweta wî ew qeder mezin bû ku di cotgehên wî de bi hezaran pale dixebitîn. Hezret, wî zemanê xwe jî wiha vedibêje:

"Li Semerqendê di **Medresa Mewlana Qutbûddîn** de çar nexweş hebûn. Min xizmeta her çaran xist aîdê xwe. Dema nexweşîya wan zêde kir, nivînên xwe dilewitandin. Min ew bi destê xwe dişûştin û min cilên wan li wan dikirin. Ji ber ku min daîmî xizmet dikir, nexweşîya wan hate min jî û ez jî ketim nav nivînan. Lêbelê min bi vî halê xwe jî bi cêran av dikişand, dianî û pê binê wan temîz dikir û li ser şûştina cilên wan dewam kir." [209]

Halê Hezretê Ûbeydûllah Ehrar çi qeder îbretdar e. Hezret, heke xwestiba, karîbû bi vê serweta xwe wan xizmetan bi hinek mirovên din bide kirin û ew hîç jî neketa zehmetîyê. Lêbelê wî ji bo

208. Hedaîqû'l-Werdîye, rûp. 651.
209. Hedaîqû'l-Werdîye, rûp. 653.

ji fezîleta îsarê mehrûm nemîne, wî ji rehetîya şexsî ya xwe fedakarî û ferağet dikir.

**Ebbas bin Dehqan** diguhêze, dibêje:

"*Ji însanên ku ez pê dizanim tekane însanê ku wekî hatî dinyayê wilo mirî **Bişr bin Haris** e. Ew rût û tazî hate dinyayê û rût û tazî jî jê çû. Dema ew li ser nivîna mirinê bû, yek hate cemê, tiştek jê xwest. Di wê esnayê de ji gomlekî pê ve tiştek li ser wî nebû, wî ew gomlek jî ji xwe kir û da wî feqîrî. Wî gomlekekî din ji yekî bi deyn stand û bi vî awayî wî wefat kir. Yanî dema ew mir, wî gomlekek jî nebû. Ew bê gomlek hat û bê gomlek jî çû.*"

Li alîyê din, ji xwe di xizmetên rêya Xuda de ya mûhîm ev e mirov karibe xizmeteke ku ti kes wê nake, bike, ğerîbekî ku ti kes xwedîtîyê lê nake, xwedîtîyê li wî bike. Naîlbûna ji bo sirra "*dostên Heq diçin ji dikanên ku ti kes naçe wan kirrîn-firotinê dikin*." jî wiha dibe. Ew bi fedakarî-kirina ji tiştên ku ti kes qîm nake wan bide, çêdibe. Welew ku ev fedakarî, ji can be jî..

## ZIRWEYA ÎSARÊ: ÎSARA JI CAN

Îsar, şahesera ğeyret û hewldanên dînî ye. Îsar ev e; mirov karibe hezkirina ji Xuda û Resûlê wî derxîne ser hemû hezkirin û sewdayên fanî. Ji lewma Mezinê me Pêğember di şexsê **Hezretê Ûmer** de ji bo temamê ummeta xwe gotiye:

"*-Heta ku tu ji canê xwe jî bêhtir ji min hez nekî tu nabî mûmînê kamil*!" [210] Çawa Hezretê Ûmer jî bedela hezkirina xwe ya ji Xuda û Resûlê wî bi canê xwe daye û ew wek şehîd gihaye Rebbê xwe.

210. Li Buxarî, Eyman, 3'êyan binêrin.

Eşqa îlahî, fedakarîyeke rastî dixwaze. Lêbelê mirov dikare bi terk-kirina mehebbetên fanî bi wê bigihîje. Qentera eşq û mehebbetê, fedakarî ye. Însan mezintirîn bedela xwe, di ber mehebbetên xwe de didin. Lewra herkes, di oğira hezkirîya xwe de, bi qasî hezkirina xwe fedakarîyê tehemmul dike. Dema eşq û mehebbet bigihîje kemalê, fedakarîya ku di ber hezkirîyê de tê şanîdan jî digihîje zirwê. Ew dem cefa jî êdî dibin sefa.

Ewên ku îmanê bi eşqeke wiha dijîn, ew xwe ji fedakirina canê xwe nadin paş. Lewra Mezinê me Resûlê Ekrem wê şeva ku wê hicret bike, dema ji terefê dijminên wî ve dor li mala wî hate girtin, wî **Hezretê Elî** li ser nivîna xwe di cihê xwe de da razandin û ji mala xwe derket. Hezretê Elî jî mirin da ber çavê xwe û bê tirsane xwe li ser cihê Mezinê me dirêj kir.

Ayeta pîroz di bara mûmînên di zirwa îsarê de wiha dibêje:

“**Hinek mirovên wisan hene ku ji bo bidestxistina riza’ya Xuda xwe û malê xwe feda dikin**...” [211]

**Hezretê Mewlana** jî vê rewşê, çi xweş tarîf dike:

“*Heta tiştekî ji can jî ezîztir nebe, can ezîz e. Lêbelê dema tiştekî ji can ezîztir were bidestxistin, êdî navê can jî nayê bibîrxistin. Mal û can wekî berfê dihelin û diçin. Feqet heke ew di rêya Xuda de xerc bibe, Xuda ji wan re dibe kirrayar. Di Qur’anê de hatiye gotin; «**Xuda di hemberî cennetê de ji mûmînan malên wan û canên wan kirrîne**..»*” [212]

Eleyhdarê meşhûrê sofîyan **Ğulam Xelîl**, li hemberî hemû erbabên tesewwufê helwesteke dijminane şanî dida. Wî komeke sofîyan girtin û ew ji bo merkeza dewletê sewq kirin ku **Ebû’l-Huseyn**

211. Beqere, 2/207.
212. Tewbe, 9/111.

**en-Nûrî** jî yek ji wan bû. Fermanek hate derxistin, bi îdamkirina wan qerar hate dayîn.

Dema cellad dikir ku serê sofîyekî ji wan jêke, Hezretê Ebû'l-Huseyn bi awayekî arzûmendane xwe avêt pêşîya wî. Xelk ji vê bizavê şaş û metel man. Cellad jî got:

"-Hey Camêro! Tu xwe diavêjî pêşîyê lêbelê, ev şûrê ha ne tiştek wilo ku mirov wî bixwaze. Hê dora te nehatiye, çima tu lezê dikî?"

Ebû'l-Huseyn jî -quddîse sirûh- got:

"-Rêya min rêya îsarê ye. Bi qîmettirîn tişt jî; can e, heyat e. Ez dixwazim van çend nefesên wextê xwe ji bo hîn bêhtir jîyîna birayên xwe feda bikim. Lewra wextekî bi qasî nefesekê li dinyayê ji bo me ji hezar salên li axretê bi qîmettir e. Lewra ev der cihê qezenckirina riza'ya Heq e. Ew der jî cihê nêzîkbûna ji Heq e. Nêzîkbûna ji Heq jî bi xizmetê tê bidestxistin. Ji bo vê ez van çend nefes wextê xwe ji bo dostên xwe feda dikim." [213]

**Mal**, **can** û **ewlad**, sê nîmet in ku dilê însanî ji her tiştên din bêhtir bi wan ve ye û zor e ku mirov karibe terka wan bike. Li ser vî esasî îmtîhana ku di van hersê xusûsan de were kirin wê îmtîhanên zortirîn bin. Cenabê Heq çendîn evdên xwe di van xusûsan de ji bo îmtîhanên giran rûbirû hiştine û di evdînîyê de dereca semîmîyeta wan ezmûn kiriye.

Hezretê Îbrahîm di van hersê xusûsan de jî bi lutfa Xuda îmtîhan qezenc kiriye û ew ji bo Heq bûye "**Xelîl-dost**". Ew ji feqîrtîyê netirsaye û kariye temamê malê xwe înfaq bike. Wî di oğira mûcadela tewhîdê de çavê xwe jê neşikandiye û xwe avêtiye nav agirê Nemrûd, wî bi vî awayî şanî daye ku hewce bike ew

213. Hucvîrî, Keşfû'l-Mehcûb, werg. Suleyman Uludağ, Îstanbûl 1996, rûp. 302.

dişê canê xwe jî ji Rebbê xwe re teslîm bike. Ji bo însanî jî yek ji îmtîhanên girantir îmtîhanbûna di bara ewladan de ye. Ew di vê babetê de jî bûye abîdeya îtaet û teslîmîyeta ji bo Heq.

Ewlad, ji ber ku ji bo dewamîya neslê dibe medar, ew ji bo arzûya ebedîtîya ku di nefsa însên de merkûz e, cure wasîteyeke tetmînkirina wê arzûyê ye. Ji lewma însan, dilê wî zehf bi ewladê wî ve ye. Lewra ewlad, perçeyek ji dê-bavê ye ku dewam dike.

Li ser vî esasî ferman li Îbrahîm hatibû kirin ku ew kurê xwe Îsmaîl ji bo Xuda bike qurban. Ew bi îmtîhana ji hemû îmtîhanên din girantir re rûbirû hatibû hiştin. Riza û teslîmîyeta Îbrahîm û Îsmaîl di asteke wisan de bûye ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wan. Wek teslîmîyet û riza'ya wan li vê dinyayê jî Cebraîl bi fermana Xuda beranek ji cennetê anî xwarê. Ew Beran jî ji bo vê bîranîna fedakarîya herduyan a ji canê wan wek îbadetekê ji bo hemû nesla îmanê hate hedîyekirin ku ewê heta bi qiyametê jî dewam bike.

Li ser vî esasî esl meqsed ji îbadetê qurbanê, ev e ku evd soz û peymanê bide Rebbê xwe ku heke hewce bike, ezê di ber Heq de ji canê xwe jî fedakarîyê bikim. Dîsa qurban ev e ku mirov karibe îmtîhana teqwayê qezenc bike û teat û teslîmîyeta xwe ji Heq re bide tescîlkirin. Çawa Xuda di ayeta pîroz de di bara qurbanan de dibêje:

"**Ne xwîna wan, ne jî goştê wan digihîje Xuda; lêbelê bes teqwaya we digihîje wî...**" [214]

**Hezretê Mewlana** fezîleta îsara ji can çi xweş îfade dike:

"*Mezinê me Pêğember gotiye:*

214. Hec, 22/37.

*Du melaîket daîm nîyaz dikin: «Ya Rebbî! Comerdên ku îhtiyacên feqîran dabîn dikin têr bike, li hemberî her dirhemeke ku wan daye, sed hezar dirheman îhsan bike...»*

*Ji xwe ewê ku canê xwe dide, ewê ku qirika xwe dirêj dike û ji Aferîner re dike qurban... Wî kesî wekî Hezretê Îsmaîl qirika xwe dirêj kiriye, wî xwe hazir kiriye ji bo xwe di rêya Xuda de bike qurban. Lêbelê Xuda wê qirikê jênake.*"

"*Heke tu ji bo riza'ya Xuda nan bidî, nan wê ji te re jî were dayîn. Heke tu di oğira Xuda de canê xwe bidî, ewê can ji te re bexş bikin.*"

"*Heke comerdîya Heq dîtiba, çawa dibe ku tu canê xwe ji ber wî digrî? Çawa dibe ku te ev qeder ji bo canê xwe ğem dixwarin? Ewê ku li ber kenarê çem radiweste û avê ji ber (gîyaneweran) digre, ew kesê qelb kor e ku çavê wî çem nabînin.*"

## BEREKETA MÛHTEŞEMA ÎSARÊ

Ew dirhema ku mirov ji nefsa xwe ferağet bike û wê bi îsarê bide, ji sed hezaran dirhemên ku wek sedeqe tê dayîn çêtir e. Ev hedîsa şerîf, wê heqîqetê çi xweş îzah dike:

Rojekê Mezinê me Pêğember gotibû:

"-*Dirhemek, ji sed hezar dirheman bûrîye.*"

Dema eshabê kîram pirs kirin, gotin:

"-Ev çawa dibe?" Mezinê me ev bersiv da wan:

"-*Du dirhemên zilamekî hebûn. Wî ji van herduyan ya baştir (nîvê malê xwe) înfaq kir. Yê din (jî mirovekî zehf zengîn bû. Wî jî)*

*çû cem malê xwe sed hezar dirhem ji navê derxistin û wî ew înfaq kir.*” [215]

Naxwe ji miqdarê malê ku hatiye înfaqkirin zehftir, dereca fedakarîya kesê ku înfaq kiriye, mûhîm e. Li gorî vê zengînîya heqîqî, ne pirrbûna mal e, têrbûna dil e. Comerdîya heqîqî jî ev e mirov zorê li derfetên xwe bike û fedakarane înfaqê bike.

**Sehl bin Ebdûllah et-Tusterî** vedibêje:

Hezretê Mûsa ev nîyaz ji Ellah Teala kir:

*“-Ya Reb! Cihê Mûhemmed û hinek kesên ji ummeta wî yê cennetê şanî min bide!”*

Axaftineke wiha ji Heq Teala jê re tê:

*“-Hey Mûsa! Qeweta te ji vê re nîn e. Lêbelê ezê dereceke mezin ji derecên wan ji te re şanî bidim. Min ev derece û Ew, ji te û ji hemû mexlûqan çêtir kirine.”*

Piştre ji alema mexlûqatan derîyek li ber wî tê vekirin. Dema wî nûra meqamê wî û nêzîkbûna wî ji Xuda dît, hema bibêje ew ji xwe çû. Ji lewma Hezretê Mûsa jê dipirse; ew çawa bilind bûye û gihaye vê derecê?

Ellah Teala jê re dibêje:

*“-Ew bi xêra exlaqekî bilind ê ku min dabûyê.”*

Dema Hezretê Mûsa pirs kir; ev exlaq çi bû?

Cenabê Heq jê re got:

215. Nesaî, Zekat, 49.

*"-Îsar, yanî îhtiyaca dîgeran li ser îhtiyaca xwe tercîh-kirin e. Kî bi vî exlaqî were cem min, ez şerm dikim wî bikişînim hesabê û ew li cennetê kuderê bixwaze ezê wî li wir bicih bikim!."* [216]

Helbet gihiştina zirweyên wiha ne karê herkesî ye. Lêbelê mûheqqeq e ku em çi qeder ji wê ufûqê nêzîk bibin, ew qeder emê nesîbên giranbiha qezenc bikin.

Divê em jibîr nekin ku biçûktirîn gava emê di bara exlaqê îsarê de bavêjin ku ew bi hemû îhtîşama wê ve rûkenîya Îslamê şanî dide, belkû ewê ji bo me jî bibe derîyê qezenceke ebedî.

Ji bilî vê jî di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Ewê ku ziktêr raze û cîranê wî birçî be, ne mûmîn e*." [217] Bi vî awayî mezinbûna mesûlîyeta me anîye bîra me. Çawa êşa azayekî beden tev his dike, divê hemû misliman jî karibin êş û azara bira-dînê xwe di dilê xwe de his bikin.

Naxwe em jî mecbûr in ku pêşî êş û azara mirovên nêzîkî xwe, piştre jî êş û azara bira-dînên xwe yên li Afrîqa û Açe'yê, welhasil êş û azara bira-dînên xwe yên li çar alîyên dinyayê di kûrahîya dilê xwe de his bikin.

**Cenabê Heq heyata me, bi bawerzîna rehma ku ji keş û hewaya maneyî ya dostên Heq û esrê seadetê tê, feyzdar bike! Hizûra wijdanî ya fedakarîyên ku emê ji bo bira-dînên xwe yên hewcedar û êşdar ên li çar alîyên dinyayê bikin, hê li vê dinyayê bike tezahura seadeta cejna ebedî ya li axretê!**

**Amîn...**

216. Îhya, III, 570-571.
217. Hakim, II, 15.



# *Li Xêrê Lez-kirin*

*Rebbê me dibêje: "«وَالْفَجْرِ» Ez bi Fecrê sûnd dixwim ku" û her wextekî fecrê, ji teqwîma emr, ji bo me rûpeleke nû vedike. Gelo emê vê rûpela emr çawa tije bikin? Emê çi qeder ji bo xwe kar bikin? Emê çi qeder dîgerkam bibin û emê çi qeder li ber serê mehrûm û bêkesan bibin? Melaîketên kîramen katibîn, îro dê ji bo dosyaya me ya qiyametê çi binivîsin? Ha mûmîn, divê bi qelbekî reqîq van heqîqetan mûhasebe bike û zemanê xwe li amelên xêrd-artirîn serf bike.*

# LI XÊRÊ LEZ-KIRIN

Cenabê Heq di Sûretê Esr de bi “**zemanî**” sûnd dixwe, bi vî awayî arzû dike ku em bala xwe li ser keyfîyet û çawanîya emrê xwe himbiz bikin.

Zeman, wekî kêreke dudev e. Heke ew di nav rûhanîyeta Kîtab û Sunnetê de were nirxandin, ji bo cennetê wesîla wusletê ye. Berevajî vê, zeman ji bo mirovên ku ji nefsa xwe re ram bûne jî hewr wekî lehîyekê ye ku diherike û diçe. Vêca îcab dike ku mirov di nav vê lehîyê de qurmikekî eware be û li serê bikişkişe û li ber biçe.

Zemanê ku derbas bûbe û çûbe ne mûmkin e, mirov bikare wî bi şûn de vegerîne. Zeman nayê berhevkirin, bi deyn nayê kirrîn û nayê firotin. Heke însan hemû mal û serweta xwe wek fidye bide, nikare wadeya seneda ecelê xwe sanîyekekê bîne pêş û nikare wê bide paş jî.

Heyata dinyayê ku sefha hazirîya ji bo alema ebedî ye, wekî defînekekê ye ku mirov di demeke kurt de wê bidest dixe. Ji lewma îcab dike mirov qedr û qîmetê nîmeta heyatê zanibe û wê bi heqî binirxîne. Lewra dema mirov vê nîmetê zayî bike, telafîkirina wê nîn e. Wekî ku ewê hîç xilas nebe wisan zemanê xwe bi hovîtî di bidûvketina arzûyên nefsanî de zîyankirin û îhmalkirina wezîfên evdînîya xwe û texîrkirina wan, di nefesa dawîn de dibe sebebê poşmanîyeke qehrker.

Emr, korîdoreke teng e ku di navbera pêçek û şûştingehê de peya dibe û radibe, ji yekûna nefesên ku em didin û distînin îbaret e. Hijmara van nefesan ji evdan ve mechûl e, ji Xuda ve malûm e, ji wan jî ya ku mirovî zehf dixe fikr û mitalan, bêşiwar "**nefesa dawîn**" e..

Nefesa dawîn, di navbera heyata dinyayê ya ku bi dawî bûye û alema ebedî ya ku ji nû destpê kirî de nuqta çaterê ye. Dîsa ew, derbasgeheke heta tu bibêjî bes asê û dijwar e. Her mûmînê xwedî îdrak divê wê derbasgehê kûr kûr tefekkur bike û di nav hewldanê de be ji bo halê xwe li ser vê îstîqametê birêbixe.

Nefesa dawîn ku perda dawîya sehne û dika heyatê ye, wekî ayneyeke berraq û bêhilm e ku encama herkesî di xwe de dide xuyakirin. Însan bi awayekî net û sade xwe di ayna nefesa dawîn de nas dike.

Dema em nefesên xwe ku perçeyên zemanê me yên zehf bi qîmet in li ser axên fanî xilas dikin, divê em ji bîra nekin ku kamerayên îlahî di her an û hînê de di qeydê de ne. Qasêda heyatê ya ku me tije kiriye jî rojekê ewê bi vê fermanê; «اقرء كتابك»: "**Kitêba xwe bixwîne!**" li me bide temaşekirin. Ew dem, emê bi awayekî sade xwe ji nû ve nas bikin.

Ji ber ku zemanê nefesa dawîna me mechûl e, roj ew roj e ku em hazirîya hesabê xwe bikin ji bo ew me bigihîne felah û xilasîyê. Ji bo amelên salih ku ew tedarika zadên axreta me ne, dem ev dem e.

Di **hedîsên şerîf** de di bîra me tê anîn ku hesabê hemû nîmetên me wê yek bi yek ji me bêne pirsîn. Di mijara xwe parastina ji ğefleta di bara wan nîmetan de jî hedîs van şîretan li me dikin, dibêjin:

"*Roja qiyametê hîç ti evdek; ji cihê xwe ranabe heta ew ji emrê xwe neyê pirskirin ka wî ew di kuderê de bûrandiye, heta ew ji îlmê xwe neyê pirskirin ka wî pê çi kar kirine, heta ew ji malê xwe neyê pirskirin ka wî ew ji kuderê qezenc kiriye û wî ew li kuderê xerc kiriye û heta ew ji bedena xwe neyê pirskirin ka wî ew di kuderê de perixandiye û derbas kiriye..*" [218]

"*Berî pênc tişt werin, pênc tiştan ğenîmet zanibe: Berî yextiyarbûna xwe ciwanîya xwe, berî nexweş ketinîa xwe sağlemîya xwe, berî feqîrbûna xwe zengînîya xwe, berî zemanên meşğûlbûna xwe wextên xwe yên vala û berî mirina xwe jî heyata xwe!*" [219]

## EHEMMÎYETA LEZKIRINA LI XÊRAN

Mezinê me Pêğember di bara ehemmîyeta lezkirina li xêran de di heyata nimûneyî ya xwe de bi fezîletên bê jimarên ku têde raxistine ber çavan, ew teblîğ kiriye. Nimûneyekê ji van jî **Ûqbe bin Haris** wê wiha vediguhêze, dibêje:

Min carekê li pey Mezinê me Resûlûllah nimêja esrê kiribû. Resûlê Xuda silav da, nimêja xwe xilas kir û bilezûbez ji cihê xwe rabû. Ew bilez çû odeya jinekê ji xanimên xwe. Cemaet ji vê telaşa wî kete fikaran. Mezinê me Fexrê Kaînatê piştî mideteke kurt vegerîya. Wî eshabê xwe dîtin ku ew bi sebeb vê tevgera wî ya bilez ketine meraqê, ji lewma wî got:

"*-Hate bîra min ku piçek zêr -yan jî zîv- li odeya me heye. Min got; bila ew min ji* ***lezkirina li xêran*** *asteng neke, min ferman kir ku derhal wî belav bikin.*" [220]

---

218. Tirmizî, Qiyamet, 1.
219. Buxarî, Rîqaq, 3; Tirmizî, Zuhd, 25.
220. Buxarî, Ezan, 158, el-Amel fis-Selat 18; Nesaî, Sehw, 104.

Di hedîseke şerîfa din de jî wiha hatiye gotin:

"*Lezê li dana sedeqê bikin. Lewra bela, nikare bikeve pêşîya sedeqê.*" [221]

Çawa fezîleta nimêjê di edakirina wê ya di wextê pêşî yê wê de ye, aynî wisan fezîleta înfaqê jî di kirina wê ya di firsenda pêşî de ye, bê texîrkirin. Ev exlaqê nebewî, bi zehftirîn di heyata warisên Pêğember dostên Heq alim û arifan de bûye makes (xuyageh).

Ev qisseya **Hezretê Hesenê Besrî** mîsaleke îbretdara vê heqîqetê ye:

Derwêşek tiştekî ji Hezretê Hesenê Besrî dixwaze. Ew jî derhal radibe ser xwe, gomlekê xwe ji xwe dike û dide derwêşî. Ewên li wir dibêjin:

"*-Hey Hesen, bila tu çûbana malê û te tiştek ji wir dabanê!*"

Hezretê Hesenê Besrî wiha bersiv dide:

"-Carekê hewcedarek hate mizgeftê û got: «Ez birçî me!» Em ketin ğefletê û me derhal jê re xwarin neanî. Me ew li mizgeftê hişt û em çûn mala xwe. Dema em sibehê hatin mizgeftê me dît ku wa ye rebeno mirîye. Me jî kefen lê kir û ew bi axê sipart.

Roja piştre di rewşa şîyarîyê de wek zihûrateke manewî, min ew kefenê ku li wî ğerîbî pêçabû li mihrabê dît, li wir sekinîbû û min li serê jî dît ku ev hatibû nivîsîn: «Rajin kefenê xwe, Xuda ew qebûl nekir!»

Ji wê rojê pê de, min sûnd xwar û ji xwe re got: «Ji vêga û bi şûn de dema ez hewcedarekî bibînim, ez wî nadim çavnêrîkirin û ezê derhal îhtiyaca wî dabîn bikim.»" [222]

---

221. Heysemî, Mecmaûz-Zewaîd, III, 110.
222. Li Darîr Mûstefa Efendî Yuz Hedîs Yuz Hîkaye, amadekar. S. Yildirim, N.

Ha Cenabê Heq, hinek heqîqetan ji bendeyên xwe welîyan re bi awayekî fewqelade eyan dike. Meqsed ji vê ev e ku mirov, di dilan de tesîreke kûr bîne meydanê û di wê xusûsê de îstîqameteke sipehî bi însanan bide qezenckirin. Wekî ku ji vê qissetê jî tê fehmkirin; şeref û qîmetê her xêrê, di kirina wê ya di wextê wê de ye, hem jî bê texîrkirin.

## DÎMENEKE ÎBRETDAR, JI NEFESA DAWÎN

**Rebî bin Heysem** -rehmetûllahî eleyh- halê hezînê di nefesa dawîn de ya kesê ku amelên salih texîr kiribe û nefsa wî tezkîye nebûbe wiha vedibêje:

“*Însan berî mirinê dilê wî bi çi tiştî ve be, rûhê xwe jî di wê rastê de teslîm dike. Carekê ez li cem zilamekî bûm, ew li ber sekerata mirinê bû. Min çi qeder digot; «**La îlahe îllellah!**» û ew lê telqîn dikir, wî jî her bi telîyên xwe wekî ku peran bijimêre, wisan hinek hesab dikirin.*”

Yanî însan bi ekserîyet (pirranî) wan xêrên ku texîr dike û dibêje; “ezê piştre bikim” ew di wan “piştre” yan de jî bi hêsanî firsendê nabîne ku wan bike. Ji lewma arif gihane hikmeta vê heqîqeta ha; “*ewên ku dibêjin; emê sibê bikin çûne helakê*.” Lewra rojeke ku sibêya wê nabe, dibe ku di her an û gavê de were.

**Ebûhûreyre** wiha dibêje:

Zilamek hate cem **Mezinê** me **Resûlûllah** û jê pirs kir; kîjan sedeqe, sewaba wê mezintir e?

Mezinê me Pêğember wiha bersiv dayê:

---

Yilmaz, Îstanbûl 2001, rûp. 157’an binêrin.

"*-Ew sedeqa ku tu didî, di dema tu xurt û bi qewet bî de, dema sihheta te li cih be, dema çikûsîya te li ser te hebe, dema tu ji feqîrtîyê ditirsî (yan jî tam dijberî vê) dema tu arzû dikî ku hîn zehftir zengîn bibî, sewaba wê mezintir e.. (Vî karî) ji bo wê demê nehêle ku can were qirika te û tu ji nû bibêjî; «ev qeder bidin filan keso û ew qeder jî bidin bêhvan keso». Lewra ew mal, ji xwe êdî bûye yê filan warisan û bêhvan warisan.*" [223]

Di hedîseke şerîfa din de jî wiha dibêje:

"*Dirhemek sedeqe dana mirovî di dema heyata (sağlemîya) xwe de ji sed dirhem sedeqe dana di esnaya mirina xwe de bi xêrtir e.*" [224]

**Şêx Sadî** her wekî ku îlham ji van heqîqetan standibe wiha şîretan dike:

"*Tu bi xwe di heyata xwe de zadê axreta xwe tedarik bike! Lewra piştî tu bimrî eqraba wê hirs wan bigre; ewê ji bo rûhê te ti qencîyekê nekin. Dema zêrên te, nîmet hê di dest te de ye, îro tu wê bide! Piştî tu bimrî ewê ji dest te derkevin, êdî tu nabî xwediyê wan!*

*Ew kesê ku ew bi xwe zadê xwe bibe dinyaya dîtir, topa dewleta xwe pêpaşkî lêxistiye. Ez pişta xwe dihizirim û bes bi neynoka xwe wê dixwerînim, ne bi ya dîgeran.*

*Wekî çi serweta te hebe bixe nîvê çenga xwe û bide cihên danê! Heke tu nedî, ji ber poşmanîya sibê tu yê bi diranê xwe pişta destê xwe gez bikî.*"

Bi rastî înfaq nekirina mal û milk di dema wextê mirov heyî de, hiştina wî ji bo mîratxwerên ku ji terbîya manewî mehrûm gihane û

223. Buxarî, Zekat, 11.
224. Ebûdawud, Wesaya, 3/2866.

di eslê xwe de jî mechûl e ka ewê çawa xerc bikin, xwe xistina bin barekî hesabê giran ê axretê ye. Ev jî ne karê aqilekî selîm e.

Ji sehabîyan **Ebûzer** çi qeder nesîheteke bi hikmet dike, dibêje:

"*Di malekî sê şirîk hene. Yê yekê xwediyê mal e, yanî tu yî; yê duduyan qeder e. Gelo ewê xêrê, yan jî şerê wekî felaket û mirinê bîne, ji te napirse. Şirîkê siséyan jî mîratxwer in. Ew çavnêrîyê dikin ku demek berî demekê zûtir tu serê xwe deynî (bimrî), dema tu bimrî jî ewê malê xwe bibin, tu jî dê hesabê xwe bidî. Heke hêza te hebe ji van hersê şirîkan tu nebe yê bêçaretirîn!..*" [225]

Însanên zengîn dema dimrin îflas dikin, dema ew li dinyayê bûn ku ew alema xeyalê ye, xwe zengîn zen dikirin. Lêbelê dema ew bi mirinê ji bo sibeha heqîqetê şîyar dibin, dibînin ku di dest wan de, di çenga wan de tiştek nemaye, ha ew mehrûmên ebedîyetê ne. Zengînîya eslî, bi ecel îflas nekirine. Bileks, mezherbûna ji bo dewlet û serweta ebedî ye.

**Hezretê Mewlana** dibêje:

"*Heyata dinyayê ji xewnekê îbaret e. Li dinyayê bûna xwedî serwet, dişibihe defîne dîtina di xewnê de. Malê dinyayê, ji neslekê ji bo nesleke din tê guhastin û ew li dinyayê dimîne.*"

"*Melaîketê mirinê, bi standina canê zengînê ğafil wî ji xewê şîyar dike. Ew kes, ji bo malekî ku di rastîyê de ne xwediyê wî bû, li dinyayê ji ber diltengîyên ku kişandine bi heyret dibêje; ax li min! wax li min û hezar caran poşman dibe. Lêbelê êdî kar ji dest wî çûye, her tişt xilas bûye.*"

Piştî ew dikeve bin axê çi ji feqîrî hatibe kirin heman ew tişt ji zengînî jî dibe. Li wir kî çi kiribe, wê li pêşberî xwe dibîne. Ewên ku ji dinyayê diçin, hîç ferq nake; dixwaze bila wekî kole, dixwaze

225. Ebûnûaym, Hîlye, I, 163.

jî bila wekî padîşah herin, li wir hemû sermayê wan ev e; wan çi biribin, wê ew be. Ew der; ew cih e ku têde qersele û ka ji hev tên veqetandin, lingên zordar ên ku li ser seran digeran dikevin bin lingan, çendîn kole dibin siltan, çendîn siltan jî dibin kole, meqam, mewqî û rutbeyên dinyewî yên ku ne ji bo riza Xuda hatibin bikaranîn tên tine û sifirkirin, çendîn mehrûm jî bi xezînan digihin, çendîn zengînên ğafil jî wek feqîrên ebedîyetê jî dibin gerhok û parsekên mehşerê.. Li wir bes feyda sedaqeta bendeyên sadiq ji bo Heq û feyda qelbê selîm (ji xwediyên wan re) heye.

Di vê xusûsê de ev îqaza Merhûm **Necîb Fazil** çi qeder bi hikmet e:

Serrafê xesîs, kîsikekî din ji xwe bidirû!

Aqçeya ku di nezarê de derbas dibe çi be, wê berhev bike!

Di serê xusûsên dijwartirînê ku Cenabê Heq di heyata dinyayê de însanan îmtîhan dike de îmtîhana **can**, **mal** û **ewladan** tê. Evên ha dema di karên xêrê de werin bikaranîn nîmet in. Lêbelê dema ew di şerrê de werin bikaranîn jî sebebê êş û janê ne. Bes dengê dînê Îslamê ye ku ji me re bide zanîn ka çi xêr e, çi şerr e; çi nîmet e, çi jî zillet e.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Gelî yên ku îman anîne! Bila meşğûlbûna bi mal û zaroyên we, we ji kirina zikrê bibîranîna Xuda meşğûl nekin. Kî, vê bike ha ew ehlê xusranê bi xwe ne. Ji wî rizqê ku me daye we, hinekê înfaq bikin û li cem xwe nehêlin! Beriya ku mirin, were yekî ji we û ji nû ve bibêje: «Xudayê min! Çima heta demeke nêzîk te emrê min neda paş da ku min sedeqe bidaya û ez bibûma ji qencîkaran!** ” [226]

226. Mûnafîqûn, 63/9-10.

Ayeta pîroz halê mirovên ku dinyayê bi ğefletê zîyan kirine jî wiha teswîr dike, dibêje:

“**Ew li dojehê dikine feryad û dibêjin: «-Xudayê me! Me** (ji vir) **derîne** (û me bi şûn de ji bo dinyayê bişîne), **emê amelekî salih bikin ji bilî karê ku me dikir**.» (Xuda du tiştan ji wan dipirse:) **«-Ma me, temenekî wisan nedabû we ku kesê bixwaze bifikire têde karibe bifikire û di wî de şîret bigire? Ma hişyarker ji we re nehatibû?» Naxwe de ezabê tam bikin! Ji zaliman re ti arîkar jî nîn in**.” [227]

**Hezretê Îmam Ğezalî** wiha şîretan dike, dibêje:

“*Ey kur! Vêga bihizire ku te wefat kir û tu bi şûn de ji bo dinyayê hatî vegerandin. Tu wê halê xwe yê heyecanê bifikre! Naxwe îro qet‘îyen ji guneh û masîyetê nêzîk nebe û zinhar aneke îro ya tenê jî pûç nebûrîne! Lewra her nefesek nîmeteke ew qeder giran e ku bihayê wê nîn e*.”

Naxwe divê em her rojeke nû ya ku ji teqwîma emr tê vekirin ji bo xwe mohleteke nû ya îlahî ku ji me re hatiye dayîn wergirin û em li karên xêrê lezê bikin.

## HERKES WÊ POŞMANÎYÊ HIS BIKE..

**Resûlê Ekrem** di xusûsa îqazkirina me ummeta xwe de wiha gotiye:

“*-Hîç ti kes nîn e ku bimre û poşmanîyê his neke*.”

Dema sehabîyan jê pirs kir, jê re got:

“-Ew poşmanî, çi ye, ya Resûlellah?”

227. Fatir, 35/37.

Resûlê Ekrem ev bersiv da wan:

“*-Heke ewê ku (mirî) mûhsin (xwedî îhsan û mirovekî baş) be, evê ha ji bo halê xwe (baş) hê bêhtir zêde nekiriye; heke ew kesekî xirab be, evê ha jî ji ber ku terka xirabîyê nekiriye û halê xwe îslah nekiriye, wê poşman bibe.*” [228]

Yanî mirovên salih jî ji ber ku li dinyayê nîmetên di dest xwe de hîn bêhtir di rêya Xuda de serf nekirine wê hest bi poşmanîyê bikin. Herçî poşmanîya ğafila ye, ew jî (ew qeder zêde ye ku) kelîme nikarin wê bi awayekî temam îfade bikin.

Pirseke wiha ji **Hezretê Behlûl Dana** hatibû kirin:

“-Di bin erdê de zehftir çi hebû?” Dîsa ew bi xwe bersiva wê wiha dide:

“-«Ey wax û wax-wax û xwezî»yên mirîyan hene!” Ew jî îfadeya vê heqîqetê ye.

Naxwe divê em jî pêşîya hatina nedameta rojên xwe bibezin û herine xweş her karên ku Riza’ya Heq bi wan heye û em xwe ji zîyankirina wextên xwe ya bi tiştên pûç ve, biparêzin. Divê em her roja xwe wekî ku roja me ya dawîn be, wisan em bi dilekî şîyar bijîn, bi taybetî jî divê em bigihîjin wê şiûrê ku em zemanê xwe têr û tije derbas bikin.

Cenabê Heq, bi pirranî bendeyên xwe yên ku di xusranê de ne, ji bo xilasbûna wan ji xusranê û naîlbûna wan ji bo îkramên îlahî, di xusûsa ku divê ew zemanê xwe rast bikarbînin de wiha dibêje:

“**Dema tu karekî** (xêrê) **xilas bikî derhal dest bi yekî** (kar û îbadetekî) **din bike û bes berê xwe bide Rebbê xwe**.” [229]

---

228. Tirmizî, Zuhd, 59/2403.
229. Înşîrah, 94/7-8.

Yanî dema mirov îbadetek û karekî xêrê xilas bike, divê mirov derhal bibeze karekî din. Hem jî îcab dike ku mirov firsendê nede û nehêle ti zemanekî mirov bê îbadet û ji xêrê dûr derbas bibe.

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

"*Elametê qebûlbûna îbadetan, piştî wan îbadetan derhal dest avêtina îbadetên din e, heta ji mirov were, mirov peyapey bibeze xêran e*."

Dîsa bi tabîra **Hezretê Mewlana**:

"*Ecel, berî wergirtina daneyên wî, her tiştê ku divê were dayîn, divê were dayîn*."

Lewra Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Gelî yên ku îman anîne! Ji wî rizqê ku me daye we înfaq bikin, beriya rojek were ku têde ne danûstan, ne dostanî û ne jî mehder heye. Kafir, her ew in, yên zalim**." [230]

**Mezinê me Resûlûllah** jî wiha dibêje:

"*Di kirina tiştên bi feyde de lezê bikin. Lewra di paşerojeke nêzîk de wê hinek fitneyên wekî şevên tarî xwe bi ser hawîrdorê de berdin. Di wê demê de însan, wek mûmîn lê dibe sibeh, lêbelê wek kafir jî lê dibe êvar; wek mûmîn lê dibe êvar, lêbelê wek kafir jî lê dibe sibeh; (lewra) ew dînê xwe bi pertalekî hindikê dinyayê difiroşe*." [231]

Naxwe dema hê firsed di dest mirov de be, divê ji bo her mûmînî hedef be ku ew lezê li xêrê bike û li tedarik-kirina zadê axreta xwe binêre. Divê mirov bi zewq û sefaya demî ya dinyayê û bi avezêrîyên xapînokên wê bawer nebe. Divê mirov jibîr neke

230. Beqere, 2/254.
231. Mûslim, Îman, 186; Tirmizî, Fîten 30, Zuhd 3.

ku malên li vir di dest mirov de ti ferqa wî ji defîna ku di xewnê de hatibe dîtin nîn e. Naxwe îcab dike mirov ji bo heyata heqîqî û ebedî hazirîyê bike.

## MIROV JI BO XWE ÇI ŞANDIBE AXRETÊ EW E, MALÊ RASTÎYÊ MIROVÎ

Malbata **Mezinê me Pêğember** mêşinek serjê kiribû û goştê wê înfaq kiribû. Dema Mezinê me ji wan pirs kir; ji mêşinê çi ji bo me maye? Jê re hate gotin:

"-Sade polek maye." Vêca Mezinê me di bara gelo serweta heqîqî çi ye de cîhetê nêrîna nebewî wiha îzah kir, got:

"*-Naxwe bibêjin ji polekî pê ve yê din tev bû yê me!*" [232]

**Ebdûllah bin Şihhîr** vedibêje:

"Rojekê **Resûlûllah** Sûretê Tekasur dixwend. Çi dema wî sûret xwend û ew xilas kir, wiha got:

"*Însan her dibêje; malê min û her malê min. Ey însan! Ma ji bilî malê ku te xwaribe û xilas kiribe, yan malê ku te li xwe kiribe û kevin kiribe, yan jî malê ku te wek sedeqe dabe û ji bo sewab qezenckirinê li pêşîya xwe şandibe, pê ve te malekî din heye!?.*" [233]

Mezinê me Pêğember di hedîseke dîtira şerîfa xwe de dîmenekê ji roja qiyametê wiha teswîr dike, dibêje:

"*Xuda wê bê tercuman bi her yekî ji we re biaxive. Însan wê li terefê rastê xwe binêre; ewê ji ya ku şandibe axretê pê ve tiştekî din nebîne. Ewê li terefê çepê xwe binêre, wê ji ya ku şandibe axretê pê ve tiştekî din nebîne. Ewê li pêşberî xwe binêre, ji cehennemê*

232. Tirmizî, Qiyamet, 33.
233. Mûslim, Zuhd, 3-4.

*pê ve tiştekî din nebîne. Naxwe êdî (heke we tiştek nebe jî) heke bi nîv-xurmekekê be jî xwe ji agirê cehennemê biparêzin. Ewê ku wî ev jî nebe, bila xebereke xweş (bibêje, dil xweş bike û wilo) xwe biparêze*." [234]

Naxwe însanî li pêşîya xwe bi navê xêrê, yan jî şerrê çi şandibe axretê, ewê derkeve hemberî wî. Li axretê her tişt, ji tecessumbûna kirinên însanî yên ku li dinyayê bi wan rabûye, îbaret e. Ji lewma Rebbê Mezin û Bilindê me, me bendeyên xwe wiha îqaz dike, dibêje:

"**Gelî yên ku îman anîne! Ji Xuda bitirsin û bila herkes binêre ka ji bo sibêya xwe çi hazir kiriye! Ji Xuda bitirsin, hemin Xuda ji kirinên we xeberdar e**." [235]

**Şêx Sadî** dibêje:

"*Însanê aqilmend malên xwe, dema diçin cîhana dîtir perên xwe bi xwe re dibin. (Yanî pêşî malê xwe di rêya Xuda de înfaq dikin.) Lêbelê xesîs, hesreta wî dikişînin, wî li vir dihêlin û diçin*."

## JI ÎLLETA XESÎSTÎYÊ XILAS BIBE!..

Nemerdî-kirin û xwe ji înfaqê dûr-kirin, heyata axreta xwe avêtina tehlûkê ye. Rebbê me di ayeta pîroz de dibêje:

"**Di rêya Xuda de xerc bikin. Xwe bi destê xwe neavêjin tehlûkê**.." [236] Bi vî awayî Rebbê me, me bendeyên xwe îqaz dike.

Ew mal û nîmetên ku nayên înfaqkirin, her wekî hevalê bê emek in. Dema roj were û sermayê emr xilas bibe, hingê ew bêwe-fatîya xwe şanî dide û xwediyê xwe li meydanê bi tenê û mûhtac

234. Buxarî, Zekat 9, 10, Rîqaq 31, Tewhîd 36.
235. Heşr, 59/18.
236. Beqere, 2/195.

dihêle. Naxwe ewê ku ji malên xwe û îmkanên xwe wefadarîyê hêvî dikin, bila mal û derfetên xwe di rêya Xuda de înfaq bikin û bila malên xwe li pêşîya xwe bişînin axretê da ku wan bi awayekî sipehî li wir pêşwazî bikin. Ji lewma îcab dike ku mirov xwe ji nemerdîya nefsa xwe rizgar bike.

Çawa Xuda di ayeta pîroz de ji bo xilasîya ebedî zerûreta têkbirina nemerdîyê wiha îfade dike, dibêje:

“**Kî ji çikûsî û nemerdîya nefsa xwe were parastin, ha yên ku digihîjin felahê ew bi xwe ne**.” [237]

Lêbelê Îblîs, ji bo reşkirina paşeroja însanî, serî li hîlebazîyên curecur dide û tuxmên weswesê diçîne. Digel ku Xuda rizq dide jî, ew hewl dide ku di vê xusûsê de aqilê însanî pêpaşkî bikişîne. Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Şeytan we bi feqîrtîyê ditirsîne û tiştên mekroh li we dide hînkirin. Xuda jî ji cem xwe peymana meğfîret û lutfekê dide we**...” [238]

Xelîfe **Hezretê Elî** ev hîlebazîya şeytên baş dizanîbû, tim û daîm dîgerkamî û comerdî li walîyên xwe tewsîye dikir û ew wiha şîyar dikirin:

“*Zinhar, wî nemerdê ku we bi îhtîmala ketina tengasî û xizanîyê ditirsîne û dixwaze we ji qencîyê bide paş, wî tirsonekê ku ezma we li hemberî karên mezin sist dike û wî xwediyê hirsê yê ku meyla we dide ser zulmê û îhtîrasê ji we re qencî şanî dide, nexin meclisa îstîşareya xwe ha!*.”

Ewên ku karibin ji nemerdîya nefsê û weswesa şeytên xilas bibin, baş têdigihin ku malên înfaq dikin wê zayî nebe, bileks ewê

237. Heşr, 59/9.
238. Beqere, 2/268.

li axretê bibe sermayê seadetê û li axretê li benda wan be. Çawa di hedîsa şerîf de tê gotin:

“*Sê xeslet hene, ez di bara wan de karim bi sûnd bibêjin, van baş biparêzin:*

*Bi sedeqe-danê malê însanî, kêm nabe.*

*Ewê ku li hemberî neheqîya lê hatibe kirin sebr dike, Xuda şerefa wî zêde dike.*

*Ewê ku derîyê parsekîyekê veke, Xuda jê re derîyê feqîrtîyê vedike*..” [239]

**Hezretê Mewlana**, heqîqeta ku înfaq malî kêm nake; bileks bereketê dixe navê, çi xweş îfade dike:

“*Erda ku Xuda ew aferandiye, bila tuxmekî temîz û sağlem têde were çandin, bila ew xilas nebe; ma ji bo vê îmkan heye?”*

*“Ev erda ku fanî û hatiye û diçe, heke ji dana çandînîyên cure-cur, fêkî û mehsûlan xwe nedade paş, naxwe çawa dibe ku ew alema maneyê ya ku ji erdê ferehtir e, mehsûlan nade?”*

*“Mehsûlê axa dinyayê bêhed û bê hesab e. Mehsûlê lipekê jî heftsed e. Bala xwe bide ser vê, û fehm bike ka mehsûlê alîyê dîtir wê çi qeder be! Mal, bi sedeqe-danê kêm nabe; xêr-kirin, malî ji zayîbûnê diparêze!*.”

Her aneke heyata dinyayê ku sermayê wê îbadet û mûamelat in, ew jî ew qeder bi qîmet in ku ti kes neşê bihayê wan bide, ew tuxmên axretê ne, ewê bibin gewherên ebedîyetê. Însan, van tuxmên axretê li zevîyên dinyayê diçîne, ewê li ûqbayê mehsûlên wan biçine û berhev bike. Lêbelê heke însan van tuxmên bi qîmet, di nav gera arzûyên nefsanî de zîyan bike, ew tuxm, wê bibin

239.

mehsûlên cehennemê. Xwelî li bedbextên wiha be! Ew zemanên ku bi rûhanîyeta Kîtab û Sunnetê hatine tezyînkirin jî tuxmên seadetê ne, ewê di bexçê cenneta ebedî de şîn bibin.

Malê ku nayê înfaqkirin, dema wekî hevalekî bêwefa be, malê ku tê înfaqkirin jî her wekî dostekî bixêr û sadiq e. Di hedîsên şerîf de tê gotin:

"*Serwet, ji bo mislimanî çi xweş heval e. Bes bila wî hinek ji wê serweta xwe dabe yê feqîr, yê sêwî û yê rêwî!*" [240]

"*(Roja qiyametê) Heta hesab were dîtin, herkes wê di bin siha sedeqa xwe de be.*" [241]

**Ûbeyd bin Ûmeyr** -rehmetûllahî eleyh- jî vê heqîqetê wiha îzah dike:

"*Însan wê roja qiyametê di nav birçîbûneke dijwar, tîbûn û tazîbûnê de heşr bibin. Lêbelê ewê ku ji bo Xuda xwarin dabe, Xuda wê wî bide têrkirin; ewê ku ji bo Xuda av dabe vexwarin, Xuda wê avê bi wî bide vexwarin û ewê ku ji bo Xuda cil li yekî kiribin, dîsa Xuda wê cilan li wî bike.* "

Ewên ku di wê roja zora qiyametê de digihîjin selametîyê Rebbê wiha mizgînîyê dide wan:

"**Ewên ku malên xwe bi şev û roj, bi dizîkahî û eşkerehî didin, ji bo wan li cem Xudayê wan xelata wan heye, ji wan re ti tirs nîn e û ewê ğemgîn jî nebin**." [242]

**Welhasil,** divê em înfaqê ji bo xwe bixin tebîetê eslî, divê em di nav hewldanê de bin ji bo di her an û gaveke xwe de hemû

---

240. Ehmed, III, 21.
241. Îhya, I, 626.
242. Beqere, 2/274.

îmkanên xwe înfaq bikin, divê em qîmetê zemanê xwe zanibin û divê em lezê li kirina xêran bikin.

Rebbê me dibêje: "«وَالْفَجْرِ» **Ez bi Fecrê sûnd dixwim ku**" û her wextekî fecrê, ji teqwîma emr, ji bo me rûpeleke nû vedike. Gelo emê vê rûpela emr çawa tije bikin? Emê çi qeder ji bo xwe kar bikin? Emê çi qeder dîgerkam bibin û emê çi qeder li ber serê mehrûm û bêkesan bibin? Melaîketên kîramen katibîn, îro dê ji bo dosyaya me ya qiyametê çi binivîsin? Ha mûmîn, divê bi qelbekî reqîq van heqîqetan mûhasebe bike û zemanê xwe li amelên xêrdartirîn serf bike.

Divê em, vê gotina **Hezretê Ûmer**:

"(Di dadgeha îlahî de) *berîya hesab ji we were pirsîn, hûn hesabê ji nefsa xwe bipirsin.*"[243] Ji bo xwe bikin destûra heyatê.

Ji bo em jî karibin bi qelbekî selîm herin hizûra îlahî, zerûrî ye ku em ji bo wê roja ku têde seneda emrê me tije dibe û ji bo piştî wê jî hazirîyê bikin.

Çawa **Ûmer bin Ebdûlezîz** -rehmetûllahî eleyh- dibêje:

"*Hûn li axretê dixwazin herin kuderê, hazirîya xwe jî li gorê wê bikin!*"

Em jî ji dil û can ji bo vê dûaya Mezinê xwe **Hezretê Ebûbekr** "amîn" dibêjin û dawîyê didin peyva xwe:

"**Xudayê min! Bila çêtirîn emrê min dewreya dawî be, bila bi xêrtirîn amelên min qismê encamên wan bin, bila bi xêrtirîn roja min jî ew roj be ku ezê bigihîjim te**." [244]

**Amîn...**

---

243. Îbnû Kesîr, Tefsîr, I, 27.
244. Suyûtî, Tarîxû'l-Xulefa, rûp. 103.



# Biratî

*Enes bin Malik dibêje:*

*“Heke Resûlûllah sê rojan yekî ji îxwanên (bira-dînên) xwe nebîne, pirsa wî dikir. Heke ew li dûrîyê bûya jê re dûa dikir, heke ew li mala xwe bûya, diçû serdana wî, heke ew nexweş bûya, jê re şîfa dixwest.” 245*

*Şertê pêşî yê ulfeta ji birayê dînî, terk-kirina kulfet (bûnê) ye. Yanî di cihê ne lazim de mirov ji bo birayê xwe nebe bar, bileks mirov hewl bide ji bo barê wî sivik bike. Ulfeta (dostanîya) mirovê ku kulfeta wî nîn e û mehebbeta mirovê ku zehmetîyê nade jî daîmî dibe.*

245. Heysemî, II, 295.

# BIRATÎ

**Biratîya Îslamê**, ew hiqûqeke ew qeder ulwî ye ku Xuda xistiye navbera mûmînan ku heke ew bi heqî were rîayetkirin, ecra (mûkafata) wê mûhteşem e. Ew serkehnîya hizûr, sirûr (keyfxweşî) û seadeta (dilşadîya) takekes û civakê ye. Dîsa biratîya Îslamê ev e; mirov karibe hemû mûmînan bixe keş û hewa'ya mehebbeta dilê xwe, ji bo mirov karibe dostekî semîmî û ji can, divê mirov karibe bi keyfxweşîyên birayê xwe keyfxweş bibe, bi derdên wî hevderd bibe û di zemanên zor ên wî de jî jê re bibe serkehnîya hedan û tesellîyê û heke lazim bike jî mirov karibe di ber wî de ji nefsa xwe jî fedakarîyê bike.

Çawa **Resûlûllah** wiha dibêje:

"*Ji bendeyên Xuda hinek însan hene ku ne pêğember in, ne jî şehîd in, lêbelê roja qiyametê ji ber meqamên wan ên li cem Xuda, pêğember û şehîd bi ğibte li wan temaşe dikin*."

Eshabê kîram jê re gotin:

"-Ev kî ne û wekî çi amelên xêrê kirine? Ya Resûlellah! Ji me re bibêje, ji bo em jî ji wan re hezkirin û nêzîkatîyê şanî bidin."

Resûlûllah ji wan re got:

"-*Ev qewmekî wilo ye ku di navbera wan de ne eqrebatî heye, ne jî mûnasebeta ticaret û kar heye, ew sirf ji bo riza'ya Xuda ji hev û din hez dikin. Wellahî rûyên wan nûr e û her yek ji wan jî li ser*

*mînbereke ji nûrê ne. Dema însan (roja qiyametê) ditirsin ev natirsin, dema însan ğemgîn dibin ev ğemgîn nabin*.” û wî hema pêre pêre ev ayeta ha xwend:

“**Bizanin ku tirs ji dostên Xuda re nîn e; ewê ğemgîn jî nebin. Ew jî ev in ku îman bi Xuda anîne û ew tim bi teqwayê** (bi saya nêzîkbûna qelbî ya xwe ji Cenabê Heq) **têne parastin. Hem di heyata dinyayê de hem jî di heyata axretê de ji wan re mizgînî heye. Di peyvên Xuda de guhertin nîn e. Ha ev, xilasîya mezintirîn e**.” [246]

Dîsa Mezinê me, wiha îfade kiriye ku ji bo Xuda hezkirina ji bira-dînekî xwe ji mehebbeta Xuda re dibe wesîle, gotiye:

“*Kesek derketibû rê, ji bo here li gundekî din bira-dînekî xwe zîyaret bike. Ellah Teala li ser rêbiwara wî melaîketek (di sûretê mirovan de) wezîfedar kir da ku çavdêrîyê li wî bike (û wî biceribîne). Çi dema ew zilam hate bal melaîketî, melaîket jê re got:*

*«-Tu bi kuderê ve diçî?»*

*Wî zatî, ev bersiv dayê:*

*«-Li vî gundî biradînekî min heye, ez ji bo dîtina wî diçim.»*

*Melaîketî dubare jê pirs kir:*

*«-Ma di wî birayê te de menfîeteke te heye ku tu dixwazî jê bidest bixî?»*

*Wî zilamî jê re got:*

«*-Ne xêr, ez sirf ji bo riza’ya Xuda jê hez dikim, ji lewma ez diçim serdana wî.»*

*Vêca wî melaîketî jê re got:*

246. Yûnus, 10/62-64. (Ebûdawud, Buyû, 76/3527; Hakim, IV, 170)

*«-Tu çawa ji wî hez dikî, Xuda jî wilo ji te hez dike. Ez qasidê Xuda me. Xuda ez şandime ji bo vê mizgînîyê bidim te.»*” [247]

Pêğemberê Xuda di hedîseke şerîfa dîtir de jî dibêje:

“*Heft sinif însan hene Ellah Teala, di rojeke ku ji siha wî pê ve ti siheke dîn nîn e de, wan dixe bin siha (Erşê) xwe.. (Yek ji wan sinifan) du kes in ku ji bo Xuda ji hev û din hez dikin, hatin cemheva wan û ji cem hev-çûna wan bi vê mehebbetê tê bicihanîn..*” [248]

Ğaya bingehîna vê mehebbeta ku mûmînên kamil li hemberî bira-dînên xwe hestpê dikin, bi rizaya Xuda gihiştin e. Îstîfadekirina ji dûaya biradînên xwe, tekane nîyeta sazkirina ulfet û unsîyeta bi wî re bûna bendeyekî nêzîk ji Xuda ye.

Çawa “**îxwantî**” ya ku di tesewwufê de bi maneya “**biratîya rê**”ye jî; di rêya çûna cem Xuda de hevkarîyê, telafî-kirina kêmasîya birayê xwe û bi wî re bûna şirîkê derdan îfade dike ku ev jî, bi hessasîyeteke kûr û zehf hûr jîyîna biratîya Îslamê ye.

Dostê Heq Hezretê **Bişrê Hafî**, **Eswed bin Salim** dişîne cem Hezretê **Marûfê Kerxî**. Eswed bin Salim jê re dibêje:

“-Bişrê Hafî dixwaze bi te re bibe bira. Ji ber ku ew xwe ji eşkere gotina vê dide paş, wî ez şandim cem we. Ew dixwaze hûn wî ji bo biratîya xwe qebûl bikin. Lêbelê ew ji bicih-neanîna bi awayekî heqîqî rîayetkirina mafên biratîyê jî ditirse.”

Vêca Hezretê Marûfê Kerxî jê re dibêje:

“-Ez bi şev û roj naxwazim ji mirovê ku pê re bira bim cuda bibim.” Ew jê re çendîn hedîsên şerîfên ku fezîleta hezkirina ji bo Xuda vedibêjin, dixwîne. Piştre jî ew mahîyeta biratîya dînî û ka divê mehebbeta biratîyeke dînî jî çawa be, wiha îzah dike, dibêje:

247. Mûslim, Birr, 38; Ehmed, II, 292.
248. Buxarî, Ezan, 36.

"-Resûlê Ekrem Hezretê Elî ji bo xwe kire bira, bi vî awayî ew di îlmê de jî ji xwe re kire şirîk. Keça xwe ya ku ji her kesî bêhtir jê hez dikir jî da wî. Vêga tu şahid be, madem wî tu şandî; min jî ji bo Xuda ew ji biratîya xwe re qebûl kir. Heke ew neyê min zîyaret neke jî ezê werim wî zîyaret bikim. Ji wî re bibêje, bila em di sohbetan de hev bibînin. Bila ew tiştekî ji halê xwe ji min neveşêre, bila her halê xwe ji min re vebêje.."

Çi dema Îbnû Salim rewş veguhast, Hezretê Bişrê Hafî ğayet ji vê razî dibe û bi memnûnîyet wê qebûl dike.

## BIRATÎYA ÎSLAMÊ HÊ ÇÊTIR E...

Biratîya Îslamê girêdaneke wisan ulwî ye ku bi hevaltîyên demî yên ku tên û diçin re, heta ew bi dostanîyên heta emr hebe re, heta heta ew bi biratîya neseb û xwînê ya ku ji dê-bavan tê re jî nayê qiyaskirin. Resûlûllah ji însanîyetê re nîzama "**uxuwwet**"-eke yanî "**biratî**"-yeke wisan teblîğ kiriye ku di tarîxê de biratîyeke dîtira wekî wê nehatiye dîtin.

**Resûlê Ekrem** dibêje:

"*-Heke min kesek ji însanan ji xwe re kiriba dost, minê Ebûbekr ji xwe re kiriba dost. Lêbelê **biratîya Îslamê hê çêtir** e.*" [249]

Yanî biratîya Îslamê zirweya dostanîyê pêktîne. **Hezretê Ebûbekr** ku "**Yarê Ğarê**"[250] yê Resûlê Xuda ye, duduyê duduyan e ku sisêyê wan jî Ellah e û Siddîqê Ekber e!.. Ji ber ku Ebûbekr tim û daîm bi Pêğemberê Xuda re di halê îrtîbata qelbî de bû ew ji bo

249. Buxarî, Selat, 80.
250. Yarê Ğarê: Bi maneya "Hevalê Şikeftê" ye. Ji ber ku Hezretê Ebûbekr di dema Hicretê de di Şikefta Sewrê de bi Mezinê me Pêğemberê Xuda re hevaltî dikir, jê re ev tabîr "Yarê Ğarê" tê bikaranîn. Bi derbasbûna zemanî re êdî bûye ku ew di bara dostanîyên semîmî yên bi meşeqqet de jî hatiye bikaranîn.

çendîn îltîfatên pêğemberî yên wiha: “*Bila hemû derî werin girtin, bila derîyê Ebûbekr tenê vekirî be..*”; “*Ebûbekr ji min e, ez jî ji wî me..*” bûye mezher û wî ev wesfê ha bidest xistiye; “**nêzîktirîn mehremê sirrên nebewî!**”

Lêbelê Mezinê me Fexrê Kaînatê, biratîya Îslamê ji mefhûmê dostanîya xwe ya bi vî sehabîyê ezîzê xwe re jî çêtir û bilindtir digre.. Çawa tezahurên zirweyî yên biratîya îslamê di heyata Hezretê Ebûbekr de hatine dîtin.

Biratîya nesebê, keyfîyeteke fanî û îzafî ya aîdê vê dinyayê ye. Dema em têne dinyayê çawa me dê-bavên xwe nebijartine, aynî wisan me birayên xwe jî nebijartine. Di vê xusûsê de ji însanî re mafê tercîhkirinê nehatiye dayîn. Lêbelê di xusûsa gelo bila biradînên me kî bin de însîyatîf û destpêşxerîyek ji me re hatiye dayîn. Biryarên însanî yên rast û bi îsabet li nîşanê xistî ku ewê di vê xusûsê de tercîh bike, ewê feydê bidin însanî.

Hezretê **Hesenê Besrî** dibêje:

“*Em ji ferdên malbata xwe bêhtir, ji dost û hevalên xwe hez dikin. Lewra ferdên malbata me, me li dinyayê tînin bîra xwe, lêbelê dostên me jî wê li cihê mehşerê li me bigerin.*” [251]

**Mûhemmed bin Yûsuf Îsfehanî** jî wiha dibêje:

“*Zar û zêçên însanî, çawa dikarin wekî biratîya salih bibin? Zar û zêç, radijin mîrasa însên, wê bi zewq dixwin û wextê xwe pê dibûrînin. Biratîya baş jî matema (şîna) însên digre, halê wî yê di qebrê de difikre û dema ew di bin axê de radize, jê re dûayên xêrê dike.*”

Çawa tê dîtin, yek ji mûhîmtirîn şertê biratîya rastî ya îslamê jî wefadarî ye. Yanî ew bi biratîya xwe di dirêjahîya heyata xwe de

251. Îhya, II, 437.

mehebbetê dide dewamkirin û di piştî wefata xwe de jî bi ferdên malbata xwe û ehbabên xwe re mehebbetê diajhoyê û bi dûayên xêrê wî biradînê xwe bibîrtîne.

## BIRATÎYA ENSARÎ-MÛHACIRAN

Cenabê Heq, di xusûsa ku divê biratîya îslamê çawa be de ji me re biratîya mûhacirên ku ji Mekkê hicret kiribûn û ensarîyên ku bi mehebbet ew hemêz kiribûn, yanî biratîya navbera mislimanên ehlê Mekkê û mislimanên ehlê Medînê nimûne şanî dide. Ew ji me dixwaze em li wan meyzînin û halê xwe jî li ber halê wan mîzan bikin.

Ew peymana biratîyê ya ku Mezinê me Pêğember di navbera Mûhacir û Ensarîyan de tehqîq kiribû, tabloyeke bêhempa'ya fezîletê ye. Ew biratîyeke ew qeder sağlem bû heta ku Ensarîyan adeta malê xwe beyan dikirin, çi tiştekî wan hebû tev li holê datanîn û karîbûn ji bo xwe raçav bikin ku ew tam bi awayekî wekhev wî bi birayên xwe mûhaciran re parve bikin. Li hemberî vê helwesta wan jî mûhacir jî ku dilên wan her wekî xezîneyeke qernaetê bû, di halekî îstiğnayê de karîbûn çavtêrîya xwe şanî bidin û bibêjin:

"-Birayê min! Mal û milkê te ji te re pîroz û bimbarek be! Tu ji kerema xwe rêya çarçîyê ji min re şanî bide, kafî ye!" Wan di bara derbasbûna biratîya dînî ji asebîyeta eqrebatîyê de çendîn mîsalên bi îbret şanî dane.

Çawa di Herba Bedrê de ku ew berxwedana pêşî ya îmanê li dijî kufrê ye, Hezretê Ebûbekr û kurê xwe, Ebû Ûbeyde bin Cerrah û bavê xwe û Hezretê Hemza û birayê xwe bi şûr hatin hemberî hev. Yanî asebîyeta dînî asebîyetên fanî sifir kirin..

**Zubeyr bin Ewwam** menzareyeke biratîya dînî ya ku li Uhudê hatiye jîyanê û ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wê, wiha vedibêje:

“Dêya min **Safîye**, du xirqe bi xwe re anîbûn, ew deranîn û got:

«-Min ev anîn ji bo hûn ji birayê min **Hemza** re bikin kefen.»

Me rahişte xirqan û em çûne cem Hezretê Hemza, li cemê şehîdekî Ensarî yê din jî hebû û hê ji wî re kefenek peyda nebûbû ku wî pê binixumînin. Me şerm kir em herdu xirqan li Hemza bipêçin û em wî yê Ensarî jî bê kefen bihêlin. Me got; bila xirqeyek ji Hemza re bibe kefen û bila ya din jî ji yê Ensarî re bibe kefen. Ji ber ku xirqeyek mezin bû û xirqa din jî biçûk bû, me di navbera herduyan de qura kirin.” [252]

Ha ev biratîya wan ya ku wan bi çendîn tabloyên fezîletê yên dîtir jî ew raêxistine, Ellah Teala ew giranbiha qebûl kiriye û ew wek peyameke ebedî di Qur’ana Pîroz de zikr kiriye, gotiye:

“**Ensarîyên ku berîya mûhaciran** (Medîne) **ji xwe re kirine cih û war û îman di dilê xwe de bicih kirine, ji mûhacirên ku hicret dikin û tên cem wan, hez dikin. Ew ji bo malê ku ji wan re hatiye dayîn jî di dilên xwe de hest bi çavnebariyek û rehtîyekê jî nakin. Ew îhtiyaca mûhaciran li pêşîya îhtiyaca xwe digrin; çendî pêdiviya wan bi wî malî hebe jî**.” [253]

Ev ayeta pîroz çendîn **hukmên hiqûqê biratîyê** di nav xwe de dihewîne. Bi nêrîna vê ayetê ji biratîya îslamê meqsed, ne sade dostanî û nêzîkatîya di zemanên rehetîyê û sohbetên çay-qahwê de ne, biratîya dînî nêzîkatîya ku di rojên zor de tê şanîdan û şirîkatîya derda ye. Ji bilî vê jî birayê xwe li ser xwe tercîhkirin û fedakarî kirin e.

252. Ehmed, I, 165.
253. Heşr, 59/9.

## NEBE BAR, BIBE YAR!.. (NEBE GIRANBARÎ, BIBE DOST!)

Çi dema kesekî ji dostê Heq **Cuneydê Beğdadî** re got:

“-Di vî zemanî de biratîyên heqîqî kêm bûne. Kanî, li kuderê ne ew, biratîyên ku ji bo Xuda dihatin kirin?..” Hezretê Cuneydê Beğdadî jê re got:

“-Heke tu li yekî digerî ku diltengîyên te tehemmul bike û hewcedarîyên te temîn bike, tu di vî zemanî de birayekî wilo nabînî. Lêbelê heke tu birayekî dixwazî ku tu ji bo Xuda arîkarîya wî bikî û ji bo riza’ya Xuda tu diltengîyên wî tehemmul bikî, yên wiha zehf gellek in.”

**Mezinê me Pêğember** dibêje:

“*Mûmîn, bi dîgeran re ulfet dike (bi wan re xweş derbas dike) û bi wî re jî ulfet tê kirin. Ew kesê ku ji ti kesî hez nake û ti kes ji wî hez nake, têde xêr nîn e*.” [254]

Ji lewma şertê pêşî ji bo ulfeta ji birayê xwe; terk-kirina kulfetê/bar-bûnê ye. Yanî di cihê ne lazim de mirov ji bo birayê xwe nebe bar, beleks mirov hewl bide ji bo barê birayê xwe sivik bike. Ulfeta (dostanîya) yê ku kulfetê wî nebe, mehebbeta yê ku zehmetîyê nade jî daîmî dibe.

Di biratîya Îslamê de hinek şert hene ku her divê werin rîay-etkirin. Rîayetkirina van jî, heqê birayên me ne di stûyê me de. **Mezinê** me van heqan wiha xulase dike:

“*Şeş heqê mislimanî li ser mislimanî hene: Dema tu lê rast werî silavê lê bike, heke ew te gazî bike îcabet bike, heke ew şîretê ji te bixwaze şîretan lê bike, dema ew bipişike û ji Xuda re hemdê bike,*

254. Ehmed, II, 400; V, 335; Hekîm, I, 73/59.

*bibêje; «yerhemûkellah», dema ew nexweş bikeve, here wî zîyaret bike, dema ew bimre li pey cenazê wî biçe..”* [255]

“*Silavê belav bikin, zikê feqîr û hejaran têr bikin, bi vî awayî wekî ku Xudayê Ezîz û Celîl ferman li we kiriye, (ji hev re) bibin bira*.” [256]

Îcab dike ku ufûqê me di **hiqûqê biratîyê** de zehf fereh be. Lewra dereca me di biratîyê de, sewîya gihiştina (kemala) dilî ya me jî şanî dide. Bi vê nêrînê;

1. Mûmînê ku rewşa wî baş be, arîkarî-kirina wî ji bo biradînê wî yê di rewşa zor de ku serî li wî dide, di biratîyê de **merhela yekê** ye.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“.. **Wekî ku Xuda ji te re îhsan kiriye tu jî wilo** (ji mirovan re) **îhsan bike!**..” [257]

2. Di biratîyê de **merhela duduyan** jî gihiştina sirra vê ayetê “..**Tu wan ji sîmayên wan nas dikî.**.” [258] ye, yanî mirov karibe birayê xwe yê mûhtac hê wî tişt nexwestî, mirov rabe diltengîya wî jê bibe. Ev ayeta ha li me dide hînkirin ku divê em bigihîjin wê hessasîyeta qelbî ya ku karibin wan birayên xwe yên ku ji îffet û şermîya bilinda xwe zerûret û hewcedarîya xwe nabêjin jî, ji sîmayên wan nas bikin û îhtiyacên wan temîn bikin. Ev ufûqa biratîyeke bilind e.

Di wan îmaret, karwanseray û mêhvanxaneyên ku bapîrên me **Osmanîyan** çêkirine de, li ber rêwîyên ku dihatin wan xwarin

255. Mûslim, Selam, 5.
256. Îbnûmace,, Et‘îme, 1.
257. Qeses, 28/77.
258. Beqere, 2/273.

datanîn û lê nedimeyzanin ka ew kî ye, hemû rêwîyan dikarîbû heta bi sê rojan li wan bimînin. Dema ew ji wan deveran diçûn jî heke pêlava wan kevin bûya, pêlaveke nû didane wan.

Zengîn jî li hebisxaneyan digerîyan û ew kesên ku ji ber nekarîbûn deynên xwe bidin ketibûne hebisê (deynên wan didan û ew) jê xilas dikin.

Dîsa mûmînên maldar, nexasim di Remezana Şerîf de li beqqalan digerîyan, kîjan rûpela defterê vedikirin bêyî ku deyndarî nas bikin hesabê wan didan, aynî wekî kevirên sedeqan, ne mirovê ku pere didan pere-wergir nas dikirin, ne jî pere-wewrgiran perebexş nas dikirin, (bi vî awayî) sirf ji bo riza'ya îlahî biratîyeke dînî ya xarîqûlade dihate jîyanê..

Ha wek mehsûleke vê hest û şiûra biratîyê di Osmanîyan de mûessesa weqfan bi tûreke şefqetê civak hûnandibû. Bi qasî hatiye tesbîtkirin di serdema Osmanîyan de 26 hezar û çendîn weqf hatine damezirandin ev jî nimûneyeke bi îbret e, şanî dide ku bapîrên me di xusûsa ğeyreta dînî de çi qeder xwedî fezîlet bûne.

Ji van jî ew weqfa ku **Bezm-î Alem Walîde Sultan** li Şamê damezirandibû pirr balkêş e. Qada xizmeta weqfê; ew tiştên ku xizmetkarên wê bi şaşî şikandibin, yan jî zîyan dabin wan, wan tiştan tezmîn dikin da ku heysîyeta wan rencîde nebe.

Hessasîyeta biratîya dînî ya ku bapîrên me berî sedsalan bi wecda îmanê raxistine, di sewîyekeke wisan de ye ku xeyalên civakên menfîetperestên îro nikarin bigihinê.

3. **Merhela sisêyan** di biratîyê de gihiştina **birr**ê ye. Yanî mirov ji bo xwe ji çi hez bike û ji xwe re çi bixwaze karibe wê ji bo birayê xwe jî bixwaze. Yanî mirov karibe birayê xwe ji xwe cuda nebîne.

Çawa **Mezinê** me **Resûlê Ekrem** dibêje:

"*Ew kesê ku tişta ji bo xwe arzû dike, wê ji bo birayê xwe jî arzû neke, nikare bibe mûmînê rastî.*" [259]

**Hezretê Osman** yek ji sipehîtirîn mîsalên vê merhela fezîletê raxistiye. Lewra dema li Medînê kêmasîya avê hebû, wî bedeleke mezin da, Bîra Rûme kirrî û ji bo mislimanan kire weqf. Li gorî rîwayetê, ew bi xwe jî ji bo ji vê bîrê avê bigre bi mislimanên din re kete rêza dora xwe.

Di nav bapîrên me Osmanîyan de kemal û hessasîyeta fikirîna bira-dînê xwe, nezaket, zarafet û ziravîyeke wisan bilind anîbû meydanê ku heke li malekê nexweş hebû çîçekeke sor li pencera wê malê dihate danîn, firoşer û heta zarokên taxê jî bi vî awayî têdigihan ku divê ew bi sikûnet û hêdîka di wir re derbas bibin û xwe ji bizavên ku nexweşî reht dikin, diparastin..

4. Di biratîya dînî de **dereca bilindtirîn** jî meqamê **îsarê** ye ku mûmîn birayê xwe li ser xwe tercîh bike, karibe heqê xwe ji wî re dewr bike û wî ji xwe çêtir bigre. Heke lazim bike ew bi mehrûmîyeta xwe razî bibe û karibe îhtiyaca birayê xwe li pêşîya îhtiyaca xwe bifikre. Ha ev, merteba siddîqa, mûtteqîya, saliha ye û ev jî zirweya jihev-hezkirina ji bo Xuda ye.

**Mezinê** me **Pêğember** jî ji xwe bêhtir ummeta xwe difikrî. Heta eshabê wî têr xwarin nexwaribana, wî û malbata xwe têr xwarin nedixwar. Çi di dest wî de hebû dida hewcedaran, li mala wî jî bi rojan agir di tifikê de nedihat pêxistin û nan peyda nedibû.

Ji sehabîyan **Ebûhûreyre** rojekê zehf birçî bûbû, ji bo tiştek bi dest wî neketibû ku pê zikê xwe têr bike, kevir li ser zikê xwe girêdabû. Ew di vê wezîyetê de bû, li Hezretê Ebûbekr rast hat û bi

259. Buxarî, Îman, 7.

hêvîya ku dibe zikê wî têrxwarin bike, ayetek jê pirs kir. Hezretê Ebûbekr jî bersiva pirsa wî da û piştre ji wî derbas bû, çû.

Piştre Hezretê Ûmer derket hat. Wî jî wisan kir. Lewra di wê gavê de derfetên herduyan jî nebûne.

Dema wî ew digot Mezinê me Pêğember Ebûhûreyre dît û tişta ku di qelbê wî re derbas dibû ji sîmayê wî fehm kir û ew ji bo mala xwe bang kir. Di firağekê de hinek şîr ji mala Mezinê me re hatibû. Dema Ebûhûreyre şîr dît pê keyfxweş bû, lêbelê Mezinê me Pêğember ji Ebûhûreyre re got; here, (ji bo xwarinê) ehlê Suffê bang bike.

Ehlê Suffê, mêhvanên Îslamê bûn. Ne malbatên wan hebûn, ne mal û milkên wan hebûn, ne jî kesekî wan hebû ku biçin li nav wan bihewin. Mezinê me Pêğember, dema sedeqekek dihat di cih de ew ji wan re dişand û wî bi xwe jî ji bo xwe tiştek jê nedistand. Heke ew tiştê ku dihat dîyarîyek bûye jî, wî bi xwe miqdarek jê werdigirt, qismê mayî hemû ji wan re îkram dikir.

Bangkirina Resûlê Xuda ji bo ehlê Suffê, zehf li xweşîya Ebûhûreyre neçûbû. Lewra şîr, têra ehlê Suffê nedikir heta ku hinek ji wan zêde bike û ji wî re jî bimîne. Lêbelê ji ber ew difikrî ku îtaet nekirina ji fermana Resûlê Xuda re çênabe, derhal ew çû ehlê Suffê gazî kirin.

Mezinê me Pêğember ji Ebûhûreyre re got; şîr yek bi yek ji ehlê Suffê tevan re îkram bike. Her sehabîyê ku radihişt firağê heta jê têr vedixwar firağ bi şûn de dida. Piştî Ehlê Suffê tevan têr vexwarin, Ebûhûreyre firağ ji Mezinê me Resûlûllah re dirêj kir. Mezinê me rahişt firağê û dîsa ew da Ebûhûreyre û jê re got:

"*-Rûne û vexwe!*" Ew jî rûdine û têr vedixwe. Wî kengê firağ dabe Mezinê me, di her carê de Mezinê me dubare dubare jê re digot:

“*-Rûne û vexwe!*”

Di dawîyê de Ebûhûreyre got:

“-Na, ez bi wî Xudayî sûnd dixwim ku tu wek pêğember şandî, cihekî min nema ku ez vexwim.”

Di dawîyê de Mezinê me rahişt firağê, ji Xuda re hemd kir, besmele got û wî şîrê mayî vexwar.” [260]

Dîsa ev bûyera ku di rojên Herba Xendeqê de hatiye jîyînê, zehf bi îbret e:

Sehabîyên ku xendek dikolan, hatin cem Mezinê me Resûlûllah, jê re gotin; em li zinarekî asê rast hatin û me nekarî wî bişikîne. Ew sê roj bûn ku Mezinê me tiştek nexwaribû û ji nêza kevir li ser zikê xwe girêdabûn, wî xwe berda xendekê û çawa tevir lê da, perçekek jê kir û ew zinarê dijwar biçûk kir.

Di vê navê de **Hezretê Cabir** ji bo biçe malê destûr ji Resûlûllah stand. Li malê ji jina xwe re got; Mezinê me ji birçîya ketiye rewşeke wisan ku êdî hew kare xwe bigre. Jê pirs kir, jê re got:

“-Çi xwarin li malê heye?”

Jina wî jê re got; hinek çeh û kehrek li malê heye. Hezretê Cabir, ew kehr serjê kir, ceh jî hêrd. Goştê kêhr xiste beroşê, nan jî xiste firinê, derhal çû cem Resûlûllah û jê re got:

“-Ya Resûlê Xuda! Hinek xwarina me heye, hûn û kesek yan du kes kerem bikin werin.” Mezinê me jê pirs kir; çi qeder xwarina we heye. Cabir jî miqdarê hebû, jê re vegot.

Vêca Mezinê me Pêğember got:

260. Li Buxarî, Rîqaq, 17’an binêrin.

"-Oo, hem zehf e, hem xweş e! Ji jina xwe re bibêje, heta ez neyêm bila beroşê ji ser êgir nedeyne û bila nan jî ji firinê nederîne!" Piştre ji eshabê xwe re got:

"-Rabin ser xwe!" Mûhacir û Ensarî bi hev re tev rabûn.

Hezretê Cabir bi telaş çû cem jina xwe û jê re got:

"-Wey li me be! Va ye Resûlûllah tê û Mûhacir û Ensarî jî tev pê re ne."

Jina wî jê re got:

"-Ma ji te pirs kir ka çi qeder xwarina me heye?"

Çi dema Hezretê Cabir jê re got:

"-Erê, wî ji min pirs kiribû." Wê jina bi fîraset jê re got:

"-Ew dem telaş gerek nake!" Bi vî awayî mêrê xwe teskîn kir. Hê demeke zêde derbas nebûyî serê sehabîyan derket û ew hatin. Mezinê me ji sehabîyên xwe re gotin:

"-Herin hundur û cihê hev teng nekin!" Resûlûllah nan qet dikir, goşt li serê didanî, di her carê de devê beroş û firinê digirt û qetê di destê xwe de dida eshabê xwe. Heta eshabê wî têr xwarin, her nan qet dikir û goşt li serê didanî û ev dewam kir. Di netîcê de miqdarekî xwarinê ji wan zêde jî kir. Resûlê Xuda ji jina Hezretê Cabir re got:

"-*Vê bixwe, ji cîranên xwe re jî îkram bike, lewra birçîtîyê însan perîşan kirin!*" [261]

261. Li Buxarî, Meğazî, 29; Waqidî, II, 452'yan binêrin.

Di xusûsa tercîhkirina birayê xwe li ser nefsa xwe û karîn gotina: "**Pêşî birayê min**" de **Îbnû Ûmer** kemala dilî ya di Esrê Seadetê de bi van peyvên manedar îfade dike, dibêje:

"*Me zemanê wisan dîtin ku hîç ti kesî di xwedî-bûna ji bo zêr û zîv de xwe ji mislimanên din layiqtir nedidît. Vêga em di dewreke wisan de ne ku em ji birayên xwe yên misliman bêhtir ji pertalên dinyayê hez dikin.*" [262]

Di zemanê ku hevkêşîya madde-maneyê ya di civakê de di aleyhê maneyê de xirab bûbe, mehebbeta îmanê bilez helîyabe û di rûhan de jî derz û şikestinên kûr hatibin jîyînê, ev tablo rewşeke wexîmtir werdigre. Ji bo hesabên biçûk û menfîetên dinyewî dilmayîn, ğeyd û ji hev sarbûn dikeve navbera gellek mûmînan; di netîca cehalet, ezperestî û bêhisîyê de biratîya Îslamê lawaz dibe.

Haleveku Mezinê me Pêğember ji mislimanan re gotibû; *"birayên xwe li ser nefsa xwe tercîh bikin û keş û hewayeke mehebbeta semîmî tesîs bikin."*

Lêbelê mehebbet jî ji dozeke rijî û ziwa ne îbaret e. Heta misliman bi derdên birayên xwe re hevderd nebe, diltengîyên wî parve neke, qusûrên wî efû neke, di ber wî de fedakarî û ferağetê şanî nede, mirov nikare ji mehebbeteke rastî xeber bide.

Li ser vî esasî biratîya dînî, ne bi îdaya mehebbeteke sirf bi xeberdanê tenê ye ku nakeve îcraatê, lêbelê ew bi tezahurên mehebbeteke fiêlî û mûşexxes tê jîyînê. Ew mûmînên kamil ên ku ji bo mehebbeta fiêlî biserdikevin, ew ji bo mizgînîya birabûna ji Mezinê me Pêğember re dibin mezher û xuyageh.

Rojekê **Mezinê me Pêğember** got:

---

262. Heysemî, X, 285.

*“Min zehf dixwest ku birayên xwe bibînim. Min çi qeder bêrîya wan kiriye!”*

Eshabê kîram jê re gotin:

“-Ya Resûlellah! Ma em ne birayên Te ne?

Mezinê me jî ji wan re got:

“-*Hûn sehabîyên min in, birayên min jî ew in ku hê nehatine*.” [263]

Ji bo em karibin ji hezkirina Resûlê Xuda û îltîfata wî ya ku gotiye; “**birayên min**” re bibin layiq, zerûrî ye ku em bi derdê ummeta wî re hevderd bibin û em bikevin xizmeta bira-dînên xwe. Lewra xizmeta ji bendeyê wî re wekî xizmeta ji Ellah Teala re ye; xizmeta ji ummeta wî re jî wekî xizmeta ji Mezinê me Pêğember re ye.

**Rebbê me, me bixe ji wan bendeyên xwe yên bextiyar ku bi awayekî layiq rîayeta hiqûqê biratîyê kirine û karîne fermana beraeta xwe ji mesûlîyetê wergirin! Dilên me jî ji feyz û rûhanîyeta bira-dînên me tije bike!**

**Amîn...**

263. Mûslim, Teharet 39, Fedaîl 26.



# Îhya-Kirina/Sağkirina Biratîyê

*Rebbê me; arzû dike ku mûmîn bibin her wekî du destên ku hev û din dişûn. Ji herdu destên ku hev û din dişûn meqsed, mirov kêmasîyên hev û din yên maddî û manewî telafî bike, şîn û şahîya hev û din parve bike, qusûrên hev û din efû bike, ji derdên hev û din re bibe şirîk, şîretan li hev û din bike û mirov birayê xwe wek însanekî ji xwe temîztir û baştir bibîne..*

# ÎHYAKIRINA/SAĞKIRINA BIRATÎYÊ

Cenabê Heq, hemû mûmîn bira îlan kirine û ji bo şert û wacîbatên biratîyê eşkere bike jî Mezinê me Pêğember ji me bendeyên xwe re kiriye nimûneya îmtîsalê. Eshabê kîram û dostên Heq jî kirine tezahurên zirweyî ji bo rûh û şiûra biratîyê. Yek ji mûhîmtirîn wezîfên mûmînan parastina vê xezîna seadeta mûstesna ye. ew JÎ li dinyayê sade ji mûmînan re hatiye bexşkirin. Lewra ew qîmetên ku mirov bi awayekî layiq nebe xwediyê wan, ew bi zemanî re ji dest mirov diçin.

Parastina cewhera biratîyê; bi jîyîna wê ya bi hest û şiûra şefqet, merhemet, nezaket û mesûlîyetê ve bend e. Di vê xusûsê de îhmal û ğeflet şanîdan, ji şeytanî re di nîvî de derî vekirin e ku ew jî li pey firsendê ye ji bo navbera mûmînan xirab bike. Şeytan -aleyhillane- ku hema ev firsend bidest wî dikeve, derhal nefsanîyeta mûmînan tehrîk dike û ew di xirabkirina navbera mûmînan de ji hiç dereng namîne.

## TEŞWÎQA JI BO SEADETA HAŞTBÛNÊ

Dewamkirina mûmînan ya dilman û ğeydê di navbera xwe de, di nêrîna Îslamê de sûcekî giran hatiye jimartin. Mezinê me Pêğember di vê xusûsê de em ummeta xwe, wiha îqaz kirine:

“*Kî bira-dînê xwe salekê terk bike û jê biğeyde, aynî wekî ku xwîna wî birijîne, wilo gunehkar dibe.*” [264]

“*Ji mûmînekî re ne helal e ku ji sê rojan bêhtir terka bira-dînê xwe bike û jê biğeyde. Heke sê roj derbas bûbin, bila lê rast were û silavê lê bike. Heke ew silava wî vede, herdu di sewabê de ji hev re dibin şirîk. Na, heke silava wî nevede, ewê ku silav nevedabe dikeve gunehan. Ewê ku silav daye jî ji ğeydê derketiye.*” [265]

“*Nekevin xuyên xirab, ên wekî ji hev çavnebarî-kirinê. Ranebin kîn û hêrsa xwe di serê hev de nederînin. Li aybên hev negerin. Guhê xwe nedin ser axaftina dîgeran.. Gelî bendeyên Xuda! Ji hev re bibin bira!*” [266]

Dîsa li gorî beyankirina **Mezinê me Pêğember** karên ku evdan kirine di rojên Duşem û Pêncşemê de li Ellah Teala têne erzkirin. Ji bilî wî yê ku di navbera wî û bira-dînê wî de dijminahî hebe, ew cuda ye. Evdê ku şirîk ji Xuda re çênekiribe gunehê wî têne efûkirin. Ev tenbih li melaîketan tê kirin, ji wan re tê gotin:

“*Efû-xwestina van herduyan texîr bikin heta ew bi hev re haşt bibin!*” [267]

Xirab-bûna biratîya Îslamê, zeîftîyeke girana îmanê ye. Ew, însên ji merhemeta Xuda mehrûm dike. Di ayeta pîroz de wiha hatiye gotin:

“**Mûmîn, sade bira ne. Naxwe navbera birayên xwe rast bikin û ji Xuda bitirsin ji bo rehm li we were kirin**.” [268]

264. Ebûdawud, Edeb, 47/4915.
265. Ebûdawud, Edeb, 47/4912.
266. Mûslim, Birr, 30.
267. Mûslim, Birr, 35-36; Ebûdawud, Edeb, 47.
268. Hucûrat, 49/10.

“**Heke hûn** (bera) **mûmîn bin, ji Xuda bitirsin, navbera xwe** (û bira-dînê xwe) **rast bikin û ji Resûlê Xuda re îtaet bikin**.” [269]

Di van ayetan de bi eşkerehî hatiye gotin: Bila mûmînên ji hev ğeyidî navbera xwe rast bikin û bi hev re haşt bibin. Yanî biratîya dînî şalekî bi ser nîqaşên wekî “**ez mafdar im, tu ne mafdar î**” de diavêje û lazim dike ku mirov pevçûnên berê jibîr bike. Heke pêwîst bike divê mirov ji nefsa xwe fedakarîyê bike û bigihîje fezîleta efûkirina birayê xwe yê mûmîn. Lewra ğeyd, rabûna li ber fermana Xuda ye. Mûmînekî kamil jî bihayê wê çi dibe bila bibe, hîç ti zemanî bi hemdê xwe li ber fermana Xuda ranabe.

**Mezinê** me, mûnasebeta biratîya Îslamê bi îmanê re wiha îfade kiriye, gotiye:

“*Heta hûn îman neyînin, naçin cennetê. Heta hûn ji hev hez nekin jî we îman neanîye. Ma ez tiştekî ji we re bibêjim ku heke hûn wî bikin, hûnê ji hev hez bikin: Di navbera xwe de silavê belav bikin*.” [270]

Naxwe di parastina biratîya dînî de titîz bûn û bi ğeydê cih nedan, zarûreteke îmanê ye.

**Ehmed bin Qeys** wiha dibêje:

“*Biratî, cewhereke zirav û letîf e. Heke tu wê neparêzî, wê qeza were serê wê. Daîmî bi têkbirina hêrsa xwe wê biparêze da ku ewê zulm li te kirî jî, were uzr ji te bixwaze. Bi tiştê heyî îktîfa bike, ne ji bo xwe li tiştê hê bêhtir bigere, ne jî li qusûra birayê xwe binêre*.” [271]

---

269. Enfal, 8/1.
270. Mûslim, Îman, 93.
271. Îhya, II, 466.

Çawa ku di Qur'ana Pîroz de dema wesfên mûmînên mûtteqî têne jimartin, dibêje; "**ew hêrsa xwe diqurpînin û însanan efû dikin**." [272]

**Hezretê Mewlana** jî dide zanîn ku divê mûmîn, ji bo Xuda kêmasîyên hev efû bikin, qencîyê li hev bikin û biratîya xwe jî biparêzin. Ew wiha dibêje:

"*Heke te cefayek ji bira-dînê xwe dîtibe, bîne bîra xwe ku hezar wefayên wî hene!. Lewra qencî, li hemberî gunehan wekî şefaetçî ye*."

Dema mirov xeta, yan jî qusûrên bira-dînê xwe bibîne, bila mirov jê neğeyide. bila mirov bifikre ku çendîn xesletên sipehî yên wî hene. Naxwe bila mirov ji bo van sipehîtîyên wî, wan xeta, yan jî qusûrên wî efû bike, bide xatirê wan, îcab dike mirov zanibe ku esl di van rewşên wiha de îhtiyaca wî bi arîkarîyê heye û divê mirov di wê rewşê de li balê bibe.

## JI BO GUNEHAN NEFRET, JI BO GUNEHKARAN MERHEMET..

Li gorî rîwayetê ji ber ku yekî ji herdu biratîyan îstîqameta xwe xirab kiriye, ji biratîya din re jî dibêjin;

"-Êdî dest ji vî birayê xwe berde!" Ew jî dibêje:

"-Çi mûnasebet e! Bileks ew, esl vêga îhtiyaca wî bi min çêbû. Ma rast e ku mirov di zemanekî wiha de wî terk bike?! Ezê vêga şîretan lê bikim û ji bo îslahbûna wî ezê dûa ji Xuda bikim."

Şagirtekî Hezretê **Cuneydê Beğdadî** jî di netîca zeîftîyeke ku ketibûyê de heta tu bibêjî bes mehcûb bûbû û ji dergehê wî revîbû.

272. Li Alî Îmran, 3/134'an binêrin.

Ev şagirt, piştî mideteke dilê wî wêran bûbû, di wê navberê de **Cuneydê Beğdadî** bi dostên xwe re di çarçîyê re derbas dibû, çavê wî bi wî şagirtê wî ket. Şagirt, çav bi seydayê xwe dikeve û ji ber şerma xwe derhal xwe jê dûr dike. **Cuneydê Beğdadî** -quddîse sirûh- jî vê rewşê his dike û ji mirovên li cem xwe re dibêje:

"-Hûn vegerin, çûkekî min ji hêlîna min revîye!" û ew bi pey şopa şagirtê xwe dikeve.

Şagirt fetilî û li pey xwe meyzand, dema dît ku seydayê wî taqîba wî dike, tê heyecanê û gavên xwe siviktir dike. Ew dikeve kolaneke rêjêneçû, ji ber mehcûbîyeta xwe bi telaş, bi ğeyrê îxtîyarî serê xwe li dîwarî dixe. Dema wî seydayê xwe li pêşberî xwe dît, rengê wî xirab bû û mad lê nema, serê xwe bi ber xwe ve tewand. Hezret, bi dengekî mûşfiq jê re got:

"-Ewladê min! Tu bi ku ve diçî, tu ji kê direvî?! Arîkarî û himmeta seydayekî ji şagirtê wî re esl, di rojên wiha zor û zemanên mûşkil de dibe." Û ew ji bo seraya dilê xwe qebûl kir û bire dergehê xwe.

Biratîya Îslamê, wekî biratîya nesebê ye, heta ji wê jî bi pêşdetir e.. Çawa ji însanî re ne durust e, lêzimên xwe yên ku ketine gunehan xîç bike, aynî wisan ne guncaw e, wî kesê ku ji xwe re kiriye bira jî bi sedem xeta û gunehên wî, bi temamî wî red bike, yan jî wî bider bixe. Helwesta rast ev e; mirov bi destê yê ketî bigre û wî rake. Ji lewma Ellah Teala ji Mezinê me Pêğember re di bara lêzimên wî de gotiye:

"**Heke ew li ber te rabin, bibêje; «Ez ji amelên we bêrî me!»**" [273] caliba diqqetê ye ku Cenabê Heq jê re gotiye; "**ez ji kirinên we bêrî me.**" Lê negotiye; "**ez ji we bêrî me**"!..Yanî îcab dike mirov berê buğz û nefreta ji gunehan nede ser gunehkaran.

273. Şûera, 26/216.

Bila mûmîn, çi li hizûra bira-dînê xwe be, çi jî ne li hizûra wî be, xwe ji gotina peyvên ku li xweşîya wî naçin, biparêze. Lêbelê di xusûsa emrê bi'l-marûf û nehya ani l-mûnker de ji sikûtê re destûr nîn e. Yanî dema lazim bike zerûrî ye ku mirov ji bo îqazkirina biradînê xwe bi zimanekî şîrîn û mûnasib, li devereke tenha û ji pêş çavan dûr, ji wî tenê re şîretan bike.. Di rewşeke wiha de pêwîst nake mirov lê binêre ka ew şîret li xweşîya wî diçe, yan jî li xweşîya wî naçe. Lewra ev îqaz, heke çi qeder di zahirê xwe de li zora wî biçin jî di rastîyê de ew ji bo wî qencîyeke mezin in.

Yek ji dostên Heq Hezretê **Ebdûllah bin Mûbarek** bi kesekî xuy-xirab re çûbû rêwîtîyê. Dema seyaheta wan bi dawî bû û ew jî ji hev cuda bûn, Hezret dest bi girîyekî diltenikî kir. Dostên wî ji vê rewşa wî şaş û metel man, jê re gotin; çima tu digrî? Ew dostê Heq ê diltenik, kesereke kûr ji dilê xwe kişand û bi çavên kelegirî ji wan re got:

"-Digel ew qeder rêwîtî jî min nekarî xuyên xirab ên hevalê xwe yê rêwîtîyê rast bikim. Min nekarî exlaqê wî bêçareyî sipehî û xweş bikim. Ez difikrim; gelo min ji ber nuqsanîyeke xwe nekarî ji wî re bihavil û bifeyde bibim? Heke ew ji ber xetayeke min nehatibe ser îstîqametê, gelo wê sibê (roja hesabê) halê min çawa bibe!.." û wî bi îske-îsk girîyê xwe berdewam kir.

Di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Dema du birayên ku ji bo Xuda ji hev hez dikin, digihin hev, wekî du destan e ku yek ji wan yê din dişoyê. Çi dema du mûmîn werin cem hev, Ellah Teala her dike ku yek ji wan feydê ji yê din dibîne.*" [274]

Rebbê me arzû dike ku mûmîn bibin her wekî destên ku hev û din dişûn. Ji herdu destên ku hev û din dişûn meqsed, mirov

274. Îhya, II, 394.

kêmasîyên hev û din yên maddî-manewî telafî bike, şîn û şahîya hev û din parve bike, qusûrên hev û din efû bike, ji derdên hev û din re bibe şirîk, şîretan li hev û din bike û mirov birayê xwe wek însanekî ji xwe temîztir û baştir bibîne..

Ji bilî vê jî yek ji edeba biratîyê ye ku hema mirov şaşîyeke biradînê xwe bibîne, mirov di bara wî de derhal hukmê menfî nede. Lêbelê mirov bi husna zenê jê nêzîk bibe û lê binêre ka ji bo vê şaşîya wî, wî uzrekî derbasdar heye, yan na. Divê tim û daîm mûmîn, hev û din xweş bibînin, hev û din nehêja nebînin, bileks bila mirov bawer bike ku birayê wî li cem Xuda ji wî meqbûltir e.

## NAVGÎNA BINGEHÎNA YEKÎTÎ Û PEVREBÛNÊ; BIRATÎYA ÎSLAMÊ

Mezinê me, cara pêşî misliman bi rehm û îhsana îlahî wekî demsaleke biharê hemêz kiribûn; êlên Ereban ku bi dozên xwînê ji hev re dijmin bûn, di nav atmosfera biratîyeke mûstesna de dilên wan bi mehebbet bi hev xweş bûbû. Di ayeta pîroz de ev heqîqet wiha îşaret pê hatiye dayîn:

“**Hûn hemû xwe bi werîsê** (Îslama) **Xuda asê bigirin; ji hev parçe nebin! Nîmeta Xuda ya li ser xwe di bîra xwe bînin; dema hûn ji hev re dijmin bûn, wî dilên we bi yek xistibûn û hûn bi saya nîmeta wî ji hev re bûne bira. Hûn li ser keviya agirê dojehê bûn, wî hûn jê xilas kirin..**” [275]

**Hezretê Mewlana**, biratîya Îslamê çi sipehî îzah dike, dibêje:

“*Mezinê me Pêğember gotiye; «Misliman wek yek canî ne.» Ew bûne yek can, lêbelê bi saya Resûlê Xuda, bûn. Heke na, her yek ji wan ji bo yê din dijminê mûtleq bû. Li Medînê bi navê «Ews»*

275. Alî Îmran, 3/103.

*û «Xezrec» du qebîle hebûn. Ev herdu ew qeder ji hev re dijmin bi qasî ku karibin xwîna hev û din vexwin.*

*Bi feyza Hezretê Mûstefa û bi nûra Îslamê kîna wan a berê tine bû û çû. Ew dijmin, pêşîyê her wekî tirhê (tirî) li nav rezan bûn, wekî libên tirhê di weşîyan de bi hev û din ve bend bûn, birayên hev û din bûn. Lêbelê piştî ayeta «**Mûmîn biran e**.» hate xwarê bi feyz û rûhanîyeta wê, adeta wekî lipên tirhê bi hev û din ve hatin şidandin bûne wekî yek doşavê. Ew bi maneya heqîqî bi yek bûn û ji hev re bûne bira*."

Çolên Bedewîyan di serdema cahilîyetê de bi zulm, serxweveçûn, cehalet û dozên tirsnak ên xwînê, adeta bûbûne golên xwînê, bi nûra Îslamê bûne bexçekekî mûhteşemê medenîyetê. Îro ji bo me, biratîya Îslamê wek mîraseke qudsî întîqal bûye û hatiye, ew bereketeke esrê seadetê ye. Bi saya biratîya Îslamê, digel cudahîyên xwe yên her wekî nijad, netewe, meşreb û mezhebên xwe jî dîsa mûmîn, bi sed salan bi hizûra yekîtî û pevrebûnê jîyane. Windakirina vê hizûrê, hezîntirîn jidestdana ferdî û îctîmaî ye. Tekane çare ji bo îhtîrasên nefsanî, dozên ezperestî, pevçûnên sîyaset û rîyasetê û hiddet û nefretê yên ku bi tevir li yekîtî û pevrebûnê didin, "**biratîya Îslamê**" ye.

Biratîya rasteqîne'ya ji bo Xuda, her wekî vê ye ku bedenên cuda cuda bi dilekî bijîn. Rehm û bereketa Xuda, li ser mirovên ku bûbin yek û pevre bin peya dibe. Qewet û mûweffeqîyet, ji yekîtîyê dizê.

Qisseteke meşhûr e;

Zatek ji ehlê hikmetê, dema li ser doşeka mirinê wesîyetê xwe dikirin, ji kurên xwe çend kopal xwestibûn. Piştre gurzek ji wan kopalên ku jê re anîn, çêkirin û ji kurên xwe re gotibû:

“-Heydê vî bişikînin!” Dema kurên wî ew neşikandin gurz vekirin. Ji wan re gotibû:

“-Vêga yeko yeko rajin kopalan, ez binêrin ka hûnê karibin wan bişikînin?”

Her yekî ji wan rahiştibû kopalekî û ew şikandibû. Vêca wî zatî ji kurên xwe re gotibû:

“-Kurên min! Ha hûn di piştî min de jî wekî van kopalan e. Heta hûn bi kom bûn, ti kes nikare we têkbibe; lêbelê heke hûn ji hev biqetin, hûnê zû bişikin û hûnê têkbiçin.” û ji wan xwestibû ku ew di dirêjahîya heyatê de yek û pevre bin.

Ewên ku ji bo Xuda bi mehebbetê hev digrin, milên xwe didin hev, sef digrin û bi hev re ğeyret û mûcadele dikin, di ayeta pîroz de wiha medhê wan tê kirin:

“**Bêşiwar Xuda ji wan kesan hez dike ku di rêya wî de her wekî dîwarên ku bi qelayê bi hev û din ve hatine perçînkirin wisan sef digrin** (û mil bi mil) **şerr dikin**.” [276]

Di hedîsa şerîf de li ser mijara ku divê mûmîn çawa bibin yek-wicûd û yek-dil, wiha tê beyankirin:

“*Rewşa mûmîmî li hemberî mûmînî, wekî avahîya ye ku her perçeyek asê bi perçeyê din ve digre*.”

Mezinê me Pêğember ji bo vê eşkere bike, telîyên herdu destên xwe di hev re derbas kirine. [277]

Dostê Heq **Hezretê Mewlana** jî dibêje:

“*Heke xwedîyê keremê hezar kes bin jî ji kesekî ne zêdetir in*.”

---

276. Seff, 61/4.
277. Buxarî, Selat, 88; Mûslim, Birr, 65.

## HEVDERDBÛNA BI DERDÊ BIRA-DÎNÊ XWE

Ha bi sebeb vê yekîtîya dilî ye ku mûmînên kamil bi keyfxweşîya bira-dînên xwe keyfxweş dibin û bi jana wan jî diêşin. Mezinê me Pêğember vê bi teşbîhekê wiha îzah dike, dibêje:

"*Mûmîn, di hevhezkirin, li hev-rehmkirin û hevparastinê de dişibihin yek wicûdê. Dema azayek ji wicûdê nexweş bikeve, azayên din jî bi vê sebebê xew nakeve çavên wan û ta digrin.*" [278]

Bi derdê bira-dînê xwe hevderd-bûn û jê re li çareserîyê gerîn, îbadetekî îctîmaî yê mezin e ku riza'ya Xuda dide qezenckirin. Ji vê re bêgane man jî, ezperestî ye. Ji vê hêlê ve her mûmîn, mecbûr e ku derdê bira-dînê xwe di singa xwe de his bike.

Di vê xusûsê de hissîyata dostê Heq Hezretê **Ebû'l-Hesen Hareqanî** çi sipehî ye. Hezret dibêje:

"*Di saha ji Tirkistanê heta bi Şamê de strîyê ku ketibe telîya bira-dînê min, ew ketiye telîya min jî; kevirê ku li lingê wî ketibe, ew li lingê min jî ketiye. Ez hest bi jana wî dikim. Heke di dilekî de ğemgînî hebe, ew dil, dilê min e.*"

Ha ev e asoya dilî, ya ku divê mirov di biratîyeke rastîya Îslamê de jê re xwedî be..

Mezinê me Pêğember jî daye zanîn ku sirf xwe tenê fikirîn û li hemberî êş û azara bira-dînê xwe bêhest man, bi exlaqê Îslamê re lihev nayê û gotiye:

"*Ew kesê ku ziktêr raze û cîranê wî jî birçî be, ne mûmîn e.*" [279]

"*Ew kesê ku bi derdê mûmînan derdmend nebe, ne ji me ye.*" [280]

---

278. Buxarî, Edeb, 27; Mûslim, Birr, 66.
279. Hakim, II, 15.
280. Li Hakim, IV, 352; Heysemî, I, 87'an binêrin.

Li ser vî esasî li hemberî êş û azara bira-dînê xwe bêgane man, sûcekî zehf giran e. Çawa Hezretê **Serîyy-ê Seqtî** ketibû ğefleteke an û gaveke vê hestsarîyê, ew poşmanîya ku li hemberî wî halê xwe hestpê dike, wiha îfade dike, dibêje:

“Rojekê çarçîya Beğdayê şewitîbû. Mirovekî bazda, hate dev min û got: «Çarçîya Beğdayê tev şewitî, dikana we tenê xilas bû, bila çavên we rohnî be!» Birayên min ên ku dikanên wan şewitîbûn nehatin bîra min, ez wan nefikirîm û min li ser navê nefsa xwe tenê got; «-Elhemdûlillah!» Lêbelê ev bû sih sal e ku ez ji bo ğefleta wê an û gava xwe îstiğfarê dikim.” [281]

Heke ğefleta mirovî demeke kurt be jî sirf mirov xwe tenê bifikre û ji êş û azara birayê xwe yê ku li felaketê ketiye, dûr bimîne û mirov sih salan di nav toba ji bo wê ğefletê de be... çi ufûqa biratîyeke hessas e..

**Ûmer bin Ebdûlezîz** di tarîxa Îslamê de xelîfê raşid ê pêncan tê jimartin, tevna dilê wî bi hessasîyeta biratîya dînî hatibû stranê. Jina wî Fatima halekî wî yê ku ew hessasîyet dida xuyakirin, wiha diguhêze, dibêje:

“Ez rojekê ketim cem Ûmer bin Ebdûlezîz. Ew li nimêjgeha xwe rûniştibû, destê xwe sipartibû enîya xwe, bê rawestin her digrî, hêstirên çavên wî dêmên wî şil dikirin. Min jê pirs kir ka ew çima di vî halî de ye. Wî wiha bersiva min da:

«-Fatima! Girantirîn barê vê ummetê li ser pişta min e. Birçîyên di nav ummetê de, feqîr, nexweşên ku derman bi dest wan nakeve, tazîyên ku cil û berg bi dest wan nakevin, sêwîyên stûxwehr, jinebîyên ku hatine terk-kirin û bi tena serê xwe mane, mezlûmên ku nikarin li mafê xwe bigerin, mislimanên li welatên kufr û ğerîbîyê êsîr, hewcedarên yextiyar ên ku ji taqetê ketine êdî

281. Hatib el-Beğdadî, Tarîx, IX, 188; Zehebî, Sîyer, XII, 185, 186.

nikarin ji bo temînkirina îhtiyacên xwe kar û xebatê bikin, serokên feqîrên malbatan ên ku ferdên malbata wan qerebaliğ in....

Ez çi dema birayên xwe mûmînên wiha yên li welatên dûr û nêzîk bifikrim ez di bin barê xwe de diperçiqim. Heke sibê di roja hesabê de Rebbê min min ji bo van bikişîne ber hesabê, heke Resûlûllah ji bo van îtabê li min bike û serzenişê ji min bike, gelo ezê çawa cewabê bidim?!..»" [282]

Ev mîsal, hessasîyeta biratîyê ya ku divê ew kesên mesûlîyeta îdarî ya wan li hemberî mûmînan hebe jê re xwedî bin, şanî dide. Lêbelê wek ferd jî divê her misliman bi dilê xwe bi bira-dînê xwe re bibe. Di vê xusûsê de mîsalek ji tabloyên bêjimar ên fezîleta eshabê kîram jî wiha ye:

Di salên pêşîn ên Îslamê de beşek ji mislimanan ji bo Hebeşistanê hicret kiribû, li wir bi awayekî sipehî û camêrane pêşwazî li wan hatibû kirin. Piştî mideteke xebereke bêesl û esas belav bûbû ku têde dihate gotin; mûşrikên Mekkê misliman bûne, li ser vê xeberê ew misliman jî bi şûn de vegerîyan û hatin Mekkê. Dema mûşrikên Mekkê haya wan jê çêbû ku ew mûhacirên hatine, li Hebeşistanê hunsa qebûlê dîtine, ji vê hest bi endîşeyeke mezin kirin û ew şkenceya ku li mislimanan dikirin hê zêdetir kirin.

**Osman bin Mez'ûn** di bin hîmaya'ya lêzimê xwe Welîd bin Mûğîre de rehet dijîya. Dema wî dît ku Resûlûllah û eshabên wî bi zulm û şkenceyeke ji aqilder re rûbirû dimînin; hinek ji wan bi êgir têne dağdan û bi qamçîyan têne lêdan, ew di tefekkurê de noq bû û ji xwe re got:

"Wellahî, jîyîna min di nav emnîyetê de di bin hîmaya'ya mûşrikekî wekî Welîd bin Mûğîre de, nekişandina min ji bo hemû êş û janên ku biradîn û lêzimên min di rêya Xuda de dikişînin,

282. Îbnû-Kesîr, 9/201.

kêmasîyeke mezin e!. Hîmaya'ya Xuda bişereftir û bi emnîyettir e!" Wî ev fikr kir û çû cem hamîyê xwe Welîd bin Mûğîre û jê re got:

"-Kurmam! Te ez xistim bin hîmaya'ya xwe û te peymana xwe jî sipehî anî cih! Vêga ez dixwazim ji hîmaya te derkevim û herim cem Mezinê xwe Resûlûllah. Ew û eshabê xwe ji bo min sipehîtirîn nimûne ne. Min bibe dev Qureyşîyan û ji wan re bide zanîn ku te hîmaya'ya xwe ji ser min rakiriye!" [283]

Tercîhkirina Osman bin Mez'ûn ji bo hevderdbûna bi mûmînan re, dema wan ezîyet didît wî jîyîna rehet nekarîbû di ber xwe de bibe xwarê û tehemmul bike. Ji ber ku tiştek ji dest wî nedihat, wî sade karîbû wiha di derdê mislimanan de beşdar bibe. Îro wezîyeta me li pêşberî dîmenên meğdûr û mezlûm ên coğrafîya'ya Îslamê, divê em bi hissîyata vê biratîyê kûr kûr tefekkur bikin.

## SEHABÎYÊ KU JI ÎTÎKAFÊ DERTÊ...

Mûmîn, her zemanî û di her mekanî de li wesîleya riza'ya Heq digere. Elaqedarbûna bi derdên bira-dînên xwe re jî yek ji wan rêyên sipehîtirîn e ku mirov pê li riza'ya Xuda bigere. Çawa Mezinê me Pêğember jî gotiye:

"*Heta bende di arîkarîya birayê xwe de bibe, Xuda jî di arîkarîya bendeyê xwe de dibe.*" [284]

"*Misliman birayê mislimanî ye. Zulmê li wî nake, wî ji dijminan re berdest nake. Ewê ku îhtiyaca biradînê xwe temîn dike, Xuda jî îhtiyaca wî temîn dike. Ewê ku tengasîyekê ji ser mislimanî rake, Xuda jî wê tengasîyekê ji tengasîyên roja qiyametê ji ser wî rake...*" [285]

---

283. Îbnû Îshaq, Sîret, Konya 1981, rûp, 158; Heysemî, VI, 34.
284. Mûslim, Zikr, 37-38.
285. Buxarî, Mezalîm, 3; Mûslim, Birr, 58.

Ji lewma divê her mûmîn, di dilê xwe de hest bi êş û jana biradînê xwe bike û di vê rê de çi ji dest wî were jî wê bike. Bizava ku ji her bizavê bêhtir Xuda Teala razî dike, ev e ku bendeyek, ji nefsa xwe bêhtir dîgerên xwe bifikre û rehetîya wan li ser rehetî û hizûra xwe tercîh bike.

Ji ber ku bi terbîya nebewî gihabû sehabîyek ji xwedbînîya "**nefsî nefsî**" xilas bûbû û bi dîgerkamîya "**ummetî, ummetî**" gihabû, ev weqaeta ku ufûqa dilî ya wî di biratîya dînî de radixe ber çavan, çi qeder hikmetdar e:

Dema Îbnû Ebbas di meclisa Pêğemberê me de di îtîkafê de bû kesek hate balê û silav lê kir. Îbnû Ebbas piştî silav lê kir, jê re got:

"-Birayê min, ez te westayî û kedermend dibînim."

Çi dema wî zilamî jê re got:

"-Erê, ya kurmamê Resûlûllah, ez kedermend im! Filan keso heqê welayê li ser min heye (di hemberî malekî de ez azad kiribûm), lêbelê ez ji bo heqê xwediyê vê qebrê (Resûlê Xuda) dibêjim; ez nikarim heqê wî ji stûyê xwe eda bikim."

Îbnû Ebbas pirs jê kir, jê re got:

"-Ma ez ji bo te bi wî şexsî re xeber bidim?"

Çi dema wî zilamî jê re got:

"-Dibe." Derhal wî rahişt pêlava xwe û ji mizgeftê derket.

Wî zilamî li dûv wî bang kiriyê û jê re got:

"-Ma te jibîr kir ku tu di îtîkafê de bûyî, çima tu ji mizgeftê derketî?"

Îbnû Ebbas jê re got:

“-Ne xêr! Min ji vî zatê mûhteremê ku nû ji navbera me cuda bûye û di vê qebrê de razayî ye bihîst ku (dema ev peyv digotin jî ji çavên wî hêstir dibarîn):

«*Her kî karekî biradînê xwe taqîb bike û wî karê wî bike, ev ji bo wî ji deh salan di îtîkafê de manê çêtir e. Haleveku kî ji bo riza’ya Xuda rojekê bikeve îtîkafê, Cenabê Heq di navbera wî û Cehennemê de sê xendekan diaferîne ku navbera her xendekekê bi qasî navbera rojhilat û rojava ji hev dûr e..*»” [286]

Xebat-kirin ji bo telafîkirina kêmasîyeke bira-dînê xwe li cem Heq Teala xizmeteke zehf bi qîmet e. Ev mizgînîya nebewî bi eşkerehî wê qîmetê wê îfade dike, dibêje:

“*Ellah Teala hinek mirov aferandine ji bo îhtiyacên mirovan temîn bikin. Însan jî ji bo îhtiyacên xwe baz didin, diçin cem wan. Ha ew, ew kes in ku ji ezabê Xuda hatine emînkirin.*” [287]

## REHMA ÎLAHÎ: REMEZANA ŞERÎF

Di xusûsa jîyîn û dan jîyandina biratîya Îslamê de, rojên Remezanê jî nîmeteke cihêwaz û mûstesna ne. Di meha mûbareka Remezanê de rehma îlahî difûre û bi ser xwe ve diçe. Naxwe îcab dike ku mirov di vê mehê de ji bo bicihanîna wezîfa xwe ya biratîyê hessasîyeteke mezintir şanî bide.

Çawa mirovê ji hemû mirovan comerdtir **Mezinê me Pêğember** di meha Remezana Şerîf de ji wî bayê ku şîrîn şîrîn bawez dike û ti astengan nas nake jî comerdtir dibû û têde hemû îbadet û îhsanên xwe zêdetir dikirin. Çi dema jê dihate pirskirin:

“-Xêra kîjan sedeqê mezintir e?” Wî ji wan re digot:

286. Beyheqî, Şûeb, III, 424-425.
287. Heysemî, VIII, 192.

"-*Ew sedeqa ku di Remezana Şerîf de tê dayîn..*" [288]

Lewra Remezan, demsala lutfeke îlahî ye ku têde ji bo sewaba her xêr-hesenatê qat bi qat mûkafat tê dayin. Di meha Remezana Şerîf de Şeva Qedrê heye. Ew şev, ji hezar şevan çêtir e. Ew kesên ku bi awayekî layiq wê îhya dikin ji bo nîmetên bêjimar naîl dibin. Ew kesên ku li hemberî wê bêhest dibin jî ji bo mehrûmîyeteke dehşetdar dûçar dibin.

Çawa **Mezinê me Pêğember** di hedîseke şerîfa xwe de wiha gotiye:

"*Cebraîl ji bo min hate xuyakirin û got: «Ew kesê ku bigihîje Remezanê û gunehên wî nikaribin werin efûkirin, bila ji rehmê dûr be!» Min jî «Amîn!» got...*" [289]

Çawa barana Nîsanê ku li kevir û behrê bibare hîç ti feydekeke wê nabe, ji bo gihiştina heqîqeta Remezana Şerîf jî zerûrî ye ku mirov ji barana ğufrana xasê wê mehê jî sipehî îstîfade bike. Divê em Remezana Şerîf ji bo telafîkirina ji destdanên xwe yên di dirêjahîya salê de û kefaretê edakirina şaşîyên xwe firsend zanibin û divê em bi şewq û ğeyreteke mezin hewl bidin ji bo ji demsala rehm û meğfîreta wê îstîfade bikin.

Çawa bav û kalên me di vê xusûsê de jî bîranên mûstesna ji me re hiştine. Wan nexasim di vê mehê de xanî û dilên xwe ji bo ğerîb, bêkes, sêwî, jinebî û feqîr û fuqerayên li taxên xwe vekirine, rojîgir li cem xwe dane îftarkirin û bi nezaketeke cihêwaz di bin navê "**kîrêya diranan**"[290] de ji bilî îftrê ji wan re hedîye teqdîm dikirin û

288. Tirmizî, Zekat, 28/663.
289. Hakim, IV, 170/7256; Tirmizî, Deawat, 100/3545.
290. Kirêya diranan: Adeteke sipehî ji adetên Remezana Şerîf e.. Ew mirovên ku dihatin di dawetîya îftarê de beşdar dibûn, ji ber ku bûbûn wesîle ji bo malxwê malê sewabê qezenc bike, dema wan dikir ji mala îftarê cuda bibin herin, malxwê malê miqdarek pere, yan jî hedîye didan wan û wilo oğira wan bi

îkram li ser îkramê ji wan re pêşkêş kirine.. Di şadirvanên mizgeftan de di wextê derketina ji terawîhan de şerbetên ku ji hinguvê qelîte baş hatin çêkirin didane herikandin û ji cemaetê re îkram kirine. Ew bi zekat, fitre û sedeqên xwe ji bo derdmendan bûne şirîkê derdên wan û ji bo dilên ğemgîn bûne serkehnîya tesellîyê û cejn jî ji bo mirovên ji hev ğeyidî jî firsend haştkirinê zanîne. Bi vî awayî hemû çînî û beşên civakê bi hestên biratî û mehebbetê bi hev û din ve girêdabûn.

Xwezîya me bi wan be ku bi sipehîtîyên Îslamê Remezana Şerîf îhya kiribin, fermana efûya îlahî wergirtibin û karibin bi cejna heqîqî gihabin!.. Xwezîya me bi wan be ku  her şeva xwe Qedr, her kesê dîtibin jî Xizr zanibin û ev firsendên qezenca ebedî nirxandibin!..

**Cenabê Heq me tevan bike ji bendeyên salihên xwe yên ku bi hessasîyeta îmanê biratîya dînî dijîn û didin jîyandin. Ew lutf û kerema xwe ji me re îhsan bike ku em temamê emrê xwe bi amelên ji riza'ya wî re ahengsaz îhya bikin û bigihîjin cejnên ebedî!**

**Amîn...**

---

xêr dikir. Bi teşbîheke nazik ji vê adeta sipehî re "kirêya diranan" (heqdesta diranan) hatiye gotin. Meqsed jê malxwê malê feqîr û fuqerayan rencîde neke û bi uslûbekî zarîf wan keyfxweş bike.



# *Ji Bo Xuda Mehebbet Û Buğz*

*Ew kesê ku bi şeklekî ji rêberîya îmanê mehrûm, nizanibe ka ewê mehebbeta xwe ji bo ku derê hesr bike, wekî gemîyekê ye ku di nîvê okyanûsê de sekanê wê hatibe şikandin.*

*Mehebbetên ku layiqê xwe nabînin, îsrafên ğemnak ên heyata fanî ne. Mehebbetên ku di destrêjka menfîetên mûbtezel û nehêja de mabin, dişibihin çîçekên ku di kenarê tibare û peyarêyan de bel dibin ku çi zû û çi dereng ewê her werin perçiqandin û mehû bibin. Pirlantayê ku li kolanê ketibe erdê çi qeder bê şens e! Bûna mal, ji bo kesekî ne-ehl û neheq jî, çi zîyankarîyeke ğemnak e!*

# JI BO XUDA MEHEBBET Û BUĞZ

Mehebbet, ji vê tê holê; hezker di hezkirîyê/ya xwe de xusûsîy-et û taybetmendîyên xwe dibîne. Cenabê Heq bi qasî ku sifetên cemalî yên xwe di bendeyekî xwe de dibîne, ji wî bendeyê xwe hez dike. Yanî mûmînek, çi qeder exlaqê xweş ê ku Xuda û Pêğemberê wî ferman û wesîyet kirine ji xwe re bike exlaq, ew qeder ji bo mehebbeta îlahî naîl dibe.

Li vê alemê her tişt bi ziddê xwe qaîm e (ava ye). Ji ber ku ziddê mehebbetê nefret e, naxwe nefret-kirina ji yên ku Xuda ji wan hez nake jî ji bo hezkirina ji Xuda tebîîtirîn pîvan e.

Çawa Cenabê Heq, di bara pêğemberê xwe yê hezkirî de gotiye; hebîbê min û lanet li Ebûleheb anîye, ji ber ku wî ezîyet li Resûlê wî kiriye û ew ğezeba xwe jî di sûretekî Qur'ana Pîroz de ji bo temamê însanîyetê eşkere kiriye. Naxwe mirov dikare bibêje; mehebbeteke ku mirov wê bijî û ji ziddê wê nefret neke, nuqsan e, ji ciddîyet û semîmîyetê dûr e.

Xaliqê mehebbetê, serkehnî û ğayeya nîhaîya wê Ellah Teala ye. Divê mûmîn, hemû mehebbetên fanî ji bo mehebbeta îlahî pêpelingek zanibe. Lewra mehebbeta heqîqî, piştî derbasbûna ji sînorên mehebbetên fanî, destpê dike. Li pêşberî lezzeta mehebbeta îlahî, lezzetên berwext û demî yên mehebbetên din aynî wekî rohnîya mûmekî li pêşberî taverojê, kwîr dimîne.

**Hezretê Mewlana** vê çi xweş îfade dike:

"*Cenabê Heq, ji bo qurtek mehebbeta îlahî xusûsîyeteke wisan daye ku ewê nesîbê xwe ji wê bigre, digihîje xilasîya ji endîşeya herdu aleman.*"

Dostên Heq, ji bo bi zirwebûna di mehebbetê de mîsalên mûşexxes in. Mûmînên rastî, yên ku bi awayekî layiq ta'mê ji mehebbeta Xuda dixwin; ji Xuda, ji Resûlê wî û ji hezkirîyên wan jî hez dikin. Di dilên wan de emr û temenê hemû hezkirîyên dîger xilas dibe.

Hezkirina ji dê-bavan, hezkirina ji zarûzêçan, hezkirina ji mal û can, hezkirina ji dost û hevalan, hezkirina ji gundî û cîranan, hezkirina ji millet, hezkirina ji welat, hezkirina ji ezan û bangê, hezkirina ji alayê û hezkirina ji her tiştên wekî van, yanî hezkirina ji hemû nîmetên Xuda dîsa hezkirina ji bo Xuda ye, ew hezkirin tev ji bo waqifbûna ji heqîqeta mehebbetê, îşaret in.. Lewra ev cure hezkirin û mehebbetên ku di zahirê xwe de dixuyên her wekî ku mirov berê hezkirina xwe dabe dîgerê Xuda jî lêbelê ji ber ku di esasê xwe de ew ji bo Xuda ne, hizûrê ji qelb re bexş dikin.

## FÊKÎYÊN DARA NIBIWWETÊ/PÊĞEMBERTÎYÊ

Li gorî rîwayetê rojekê Resûlê Ekrem, ji Hezretê Elî pirs dike:

*"-Ya Elî! Tu, ji Ellah Teala hez dikî?"*

"-Erê ya Resûlellah, ez jê hez dikim."

*"-Ma tu ji Resûlê wî jî hez dikî?"*

"-Erê ya Resûlellah! Ez, ji Resûlê wî jî hez dikim."

*"-Ma tu ji keça min Fatima jî hez dikî?"*

"-Erê ya Resûlellah! Ez, ji keça te Fatima jî hez dikim."

*“-Baş e, ma tu ji Hesen û Hûseyn jî hez dikî?”*

“Erê ya Resûlellah! Ez, ji Hesen û Hûseyn jî hez dikim.”

Vêca Resûlê Ekrem jê re dibêje:

“*Ya Elî! Dil, yek e, hezkirin jî çar in. Ev qeder hezkirin çawa dikevin dilekî*?”

Hezretê Elî dike û nake nikare ji bo vê pirsê bersivekê bibîne. Ew dikeve fikr û mitalan û wilo divegere, tê malê. Çi dema Hezreta Fatima, mezinê xwe Hezretê Elî westayî û di fikr û mitalan de dibîne, meraq dike. Ji bo karibe wê hîn bibe ka ew çi ye, bi şefqet jê pirs dike, jê re dibêje:

“-Ez we ğemgîn dibînim; qey tiştekî ğemnak çêbû?” Bi vê dest bi peyvê dike û jê dipirse, dibêje; “heke ew tiştê ku hûn ji bo wê ğemgîn bûne, bi dinyayê re elaqedar be ji xwe ne hêja ye tu ji bo wê bikevî kul û kederan. Heke xusûseke bi axretê re elaqedar be jî, çi ye, tişta ku hûn ğemgîn kirine?”

Hezretê Elî tiştên ku di serê wî re derbas bûne vedibêje. Dema Hezreta Fatima rewşê hîn dibe bi bevkenî jê re dibêje:

“-Heydê here cem bavê min û wiha bersiva vê pirsê bide.” Hinek îzahatan jê re dike. Dilê Hezretê Elî ji van îzahatan xweş dibe û derhal bilez diçe hizûra Mezinê me û jê re dibêje:

“-Ya Resûlellah! Ji bo însanî alîyên wî yên wekî rastê wî, çepê wî, pêşîya wî, paşîya wî hene. Qelb jî wiha ye. Ez bi aqilê xwe û îmana xwe ji Xuda hez dikim, ez bi rûhê xwe û îmana xwe ji We hez dikim, ez bi nefsa xwe ya însanî ji Fatima hez dikim, ez bi îcaba tebîî ya bavîtîya xwe jî ji Hesen û Hûseyn hez dikim.”

Mezinê me Taverojê herdu cîhanan li pêşberî vê bersivê bi bevkenî dibêje:

“*-Ya Elî! Ev peyv, sade ew fêkî ne, ku ji çiqilên dara nibiwwetê hatine jêkirin.*” [291]

Wekî ku tê dîtin hemû mehebbetên ku di esasê wan de riza’ya Xuda hebe, meqbûl in. Mehebbetên ku riza’ya Xuda di wan de nebe jî pençeşêra manewî ya qelb in.

## MEHEBBETÊN DINYAYÎ YÊN KU DIL DIREVÎNIN, DIBIN

Li hemberî seadeta ebedî ya ku Cenabê Heq ji bendeyê xwe re wade daye, ew jî bi pey arzûyên dinyewî dikeve û Rebbê xwe jibîr dike -her wekî ku **Ferîdud-dîn Ettar** di hîkayetekê de veguhastiye- ev Rebbê xwe jibîrkirina wî, ehmeqtîyeke wekî ehmeqtîya wê seyê nêçîrê ye ku li cem padîşahekî îtîbareke mezina wî hebûye.. Di esnaya nêçîrekê de ew bi perçekekî hestî ve dimîne û xwediyê eslî yê xwe padîşahî jibîr dike. Di îmtîhana dinyayê de însan jî aynî wekî vê mîsalê ji bo çendîn hestîyan, yan jî êmên di serê şewkê masîyan de mûxateb e.

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

“*Gellek masî hene ku di nav avê de ji her tiştî ewle ne û ji ber hirsa qirika xwe bi şewk hatine girtin.*”

Naxwe ku bendeyek ji arzûyên nefsanî yên xwe re bibe êsîr û Rebbê xwe jibîr bike, ti ferqa wê ji vê nîn e ku mirov bi xemlên xapînokên avzêrkirî yên dinyayî bixape û meqamê ulwî yê xwe li cem Heq zayî bike, hemaqeteke wisa ye, aynî wekî ku mirov vazoyeke nadîde ya xwe ya ku bi pirlanta û bi zêr hatî xemilandin bi perçeyê tenekeyeke pîsa nehêja bifiroşe..

291. Li Turkîye Gazatesî Îslam Alîmlerî Ansîklopedîsî, I, c. Rûp. 145’an binêrin.

**Hezretê Mewlana** vê xapîna ğerîba însên jî bi vê teşbîhê îzah dike:

“*Mirov ji reva berxê ya ji gur şaş nabe. Lewra gur, dijmin û nêçîrvanê berxê ye. Esl tişta ku mirov ji berê bikeve heyretê ev e; berx ji gur hez bike û dilê xwe bi dest wî ve berde.*”

Mûmînê rastî, bi şereftirîn heyberê mexlûqata ye. Ew nikare ew derece nizm bibe ku sermayê xwe yê mehebbetê şaş bikarbîne û vê şeref û heysîyeta xwe winda bike. Ew neşê ew qeder biçûk bibe ku bi qurtek lezzeta dinyayê bixape. Ew nikare bikeve wê sefaletê ku tetmînkirina hewa û hewesên pêkhatina maddî ya xwe seadeta rastîn zen bike.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“(Resûlê min!) **Ma te ew kesê ku hewesa** (arzûyên nefsanî yên) **xwe ji bo xwe bi îlah kiriye, dît?..”** [292]

Pêğemberê Xuda di hedîsa şerîf de dibêje:

“*Xuda, li sererdê ji sexte îlahên ku têne perestin zehftir ji wan hêrs dibe, hewa û hewes e.*” [293]

Hezretê **Zunnûnê Misrî** jî rêya rast bikaranîna mehebbet û buğzê wiha îzah dike, dibêje:

“Divê mirov bibe dostê Xuda û ji nefsa xwe re bibe xesm; ne dostê nefsa xwe û xesmê Xuda be!..”

Wate ji bo mirov ji Xuda re bibe dost, divê mirov ji esareta nefsa xwe xilas bibe. Bi îfadeyeke din, divê mirov ji arzûyên nefsa xwe re meğlûb nebe da ku karibe bi dostanîya Heq bigihe.

292. Furqan, 25/43.
293. Heysemî, I, 188.

Lêbelê ew kesê ku bi şeklekî ji rêberîya îmanê mehrûm, nizanibe ka ewê mehebbeta xwe ji bo kuderê hesr bike, wekî gemîyekê ye ku di nîvê okyanûsê de sekanê wê hatibe şikandin. Xemlên avzêrkirîyên nefsanî dê wî li pey xwe bikişkişînin û bibin. Wê aqilê wî, îz'ana wî û wijdana wî li felaketê bixe. Lewra ewê ku heq dilê wî tije neke, batil wê dilê wî tije bike.

Ew mehebbetên ku ji lezzeta îmanê re ters/berevajî bikevin, dibin sersebeb ku mûmîn bi xwe re pevbiçe, zîyanê bi îmana xwe bigihîne û heta heta bikeve teqana înkarê jî. Naxwe çawa em li mîda xwe diqqet dikin ji bo luqmekeke pîs û parîyekî heram neçiyê di xusûsa mehebbetên ne layiq û ne-ehl nexistina dilê xwe de jî divê em heman hessasîyetê şanî bidin. Ji bo mûhafezekirina mehebbeta di dil de jî:

## JI BO YÊ LAYIQÊ WÊ BE MEHEBBET, JI BO YÊ MÛSTEHEQÊ WÊ BE NEFRET

Hestên mehebbet û nefretê, heke ne ji bo Xuda bin, heke ji bo mirovê ku divê mirov jê buğzê bike mirov mehebbeta xwe bidiyê, heke ji bo mirovê ku divê mirov mehebbeta xwe bidiyê jî mirov li hemberî wî bêgane bimîne, ev helwest ji hêla maneyî ve dibe felaketeke mezin.. Bi vê sedemê şert e ku mirov **berê mehebbeta xwe bide yê ku jê re layiq be û mirov berê xusûmeta xwe jî bide yê ku jê re mûsteheq be.**

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Gelî yên ku îman anîne! Ji Xuda bitirsin û bi sadiqan re bibin**." [294]

294. Tewbe, 9/119.

Lewra ji salihan tim û daîm feyz, rûhanîyet û enerjîya pozîtîf sîrayet dike, tê. Ji bo ziddê vê jî, mehebbeta ji dijminên dîn, ji fasiqan jî felaketê tîne. Li ser vî esasî dîsa Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Bi civaka zaliman re nerûne**.” [295]

Heke mirov ji bo dîwarekî ku dijminekî dîn lê kiribe jî bibêje; “eman çi sipejî ye” tesîreke menfî di qelb de peyda dibe. Lewra ecibandina kirina wî yan jî ecibandina berhema wî, ji ber ku ewê îtîbara wî dijminê Xuda bilind bike, ewê ğezeba Xuda li pey xwe celb bike, bîne. Ev hal ê ku şexsîyet û nasnameya Îslamê zeîf dike, ger û handîkapa îmtîhanekê ye ku çendîn mûmînan di bara wê de ğeflet şanî dane.

Di vê xusûsê de di tarîxa me de ew fîraseta zirava ku **Bayezîdê** duyemîn şanî daye, em jî wê ji bo xwe nimûne wergirin. Serdema Bayezîdê duyemîn Zemanek e ku têde bingehên kultur û medenîyeta Osmanîyan hatiye avêtin. Avasaz û ressamê meşhûrê Îtalyan **Leonardo Vinci**, ji Bayezîd Xan re nameyekê dinivîse û jê re pêşnîyaz dike, dıbêje; ezê bi xwe plan û projeyên mizgeft û berhemên dîtir çêkim. Ev pêşnîyaz, di navbera wezîrên Qubbealtiyê de bi keyfxweşî û kelecan tê pêşwazîkirin. Bayezîd Xan jî vê pêşnîyazê red dike û wiha dibêje:

“-Heke em vê qebûl bikin, li welatê me wê bi îtîbara uslûb û rûhê xwe avasazîyeke wekî avasazîya dêrê zal û hakim bibe. Avasazîya îslamî ya me înkîşaf (xuya) nabe û şexsîyet qezenc nake!..”

Ha ev dîtin-nêrîna li hedefê ketî û rast; weqûrtîya îslamê û esaleta îmana mûmînekî bi fîraset îfade dike. Çawa di piştî Bayezîdê duyemîn de hunera Îslamî ya Osmanîyan ber bi zirwê

295. Enam, 6/68.

ve hilgerîyaye. Di saya vê têgihiştinê de rûhê Îslamê li geometrîyê hatiye nexşkirin û sîlsîleya abîdeya **Suleymanîye** û yên wekî wê hatine meydanê û heta bi roja me jî qîmetê xwe parastine.

Heke ev hessasîyet nehatiba şanîdanê, ew berhemên hunerî wê nehatibana meydanê ku hizûra Îslamê, zarafeta wê, sipehîtî û estetîka wê û îhtîşama wê didin pêşandan û xuyakirin. Wê pêgeha medenîyeteke wisan bilind nederketa holê ku Mîmar Sînanan, Xettat Hemdûllah'an, Qarahîsarîyan û yên wekî wan karibin perwerde bibin û bigihin. Ji lewma di vê xusûsê de divê mirov şexsîyet û weqûrtîya Îslamê şanî bide û xwe ji teqlîdkirina terzê heyata ğeyrê mûsliman biparêze.

Dostên Heq; tu ji meylkirina wan a ji bo terzên heyata zalim, fasiq û kafiran neke behs, wan xwe ji mûxateb-bûna ji bo qencîyên wan jî parastine. Lewra însan ji îhsanê re meğlûb e. Di dil de li hemberî kesên ku qencîya wan hatibe dîtin hîssa nêzîkatî û meclûbîyetekê zîğ dide. Ji lewma dema bi zerûret bibe û lazim bibe ku mirov hewcedarîya xwe erz bike, divê mirov serî li kesên salih bide û mirov bi Xuda, xwe ji hewcebûna ji bo nemerdan biparêze.

Çawa wî sehabîyê ku ji Pêğemberê Xuda re gotibû; ez ji bo îhtiyaca xwe tiştekî ji dîgeran bixwazim, yan nexwazim? Mezinê me Pêğember jê re got:

*"-Ne xêr, nexwaze! Lêbelê heke tu mecbûr bibî bixwazî jî hîç nebe jî wê ji salihan bixwaze!"* [296]

Di vê mijarê de halê sêhrbazên Firewn jî mîsaleke zehf bi îbret e.

Sêhrbazan di pêşî de ji Firewn îzzet û îtîbar didîtin, bi sebeb mûcîzeyên ku wan bi çavên serê xwe dîtin, îman anîn. Firewn li

296. Ebûdawud, Zekat, 28.

hemberî vê rewşa wan ji hêrsa xwe dîn û har bû; destpê kir gefên mirinê li wan xwarin. Sêhrbaz jî bi esalet û metaneta îmanê serbilind rawestîyan û wan xwe li pêşberî batil netewand û gotin:

"**-Zulma te li dinyayê ye, tu çawa bixwazî dikarî wisan hukm bikî, çawa be jî ji xwe emê li Rebbê xwe bêne vegerandin**." Bi vî awayî jê re meydan xwendin. Berîya ew dest û pêyên wan çepûrast jêke û bi çiqilên darxurmeyan ve daleqîne jî ji bo ew eczîyeteke beşerî şanî nedin wan destê xwe bi asîmanî ve rakir û got:

"**.. Ya Rebbî! Sebrê bi ser me de birijîne** (da ku em di îmana xwe de zeîf nekevin) **û canê me wek misliman bimirîne!**" [297] Bi vê dûaya xwe wan xwe diavêt ber penaha Cenabê Heq. Piştre jî ew wek şehîd bi Xudayê xwe gihan.

Ji esrê seadetê ev bûyerên ha di hemberî mirovên ku Xuda ğezeb li wan kiriye de sipehîtirîn mîsal in ji bo qiwama qelbî ya ku divê mirov jê re xwedî be:

Mûşrikan Peymana Lihevhatina Hudeybîyê di piştî du salan de bi qetla-ameke mezina ku li dijî mislimanan kirin xirab kiribûn. Ji vê jî zêdetir ew pêşnîyazên lihevhatinê yên ku Pêğemberê Xuda ji nû ve li wan teklîf kirin jî bi diqqet wernegirtin. Piştre mûşrik tirseke mezin li wan rabû û lîderê xwe **Ebûsufyan** ji bo Medîna Mûnewwer şandin.

Li Medînê ti kesî rû neda Ebûsufyan. Hevsera Mezinê me Pêğember, dêya me **Ummû Hebîbe** digel ku keça Ebûsufyan bû jî, Ebûsufyan heta bi malê wê hatibû lêbelê wê ew mindera ku wî dixwest li serê rûne ji bin wî kişand. Ebûsufyan bi ecêbmayî jê pirs kir, jê re got:

297. Eraf, 7/126.

“-Keça min, tu minderê ji min re layiq nabînî, yan jî min ji minderê re layiq nabînî?”

Dêya me Ummû Hebîbe bersiva wî wiha da û jê re got:

“-Ev minder ya Mezinê me Pêğember e. Ji ber ku tu mûşrikekî necis î, tu hîç ne layiq î ku li serê rûnî!”

Ebûsufyan li hemberî van hevokên ku bihîstin adeta sip û sar bû û wilo ma, jê re got:

“-Keça min, piştî tu ji mala me derketî tu bûyî ecayîb!”

Dêya me Ummû Hebîbe jê re got:

“-Ne xêr, Xuda ez bi Îslamê şerefmend kirime.” Wê bi vê gotina xwe qîmetê bilindê mehebbeta îmanê yê ku di ser her tiştî re ye, jê re îfade kir. [298]

Wate şerefa îmanê, li ser hemû asebîyetên fanî ye. Çendan bavê mirov be jî, ji esaleta îmanê ye ku ew kesê lazim be mirov ji bo Xuda jê buğzê bike, divê mirov karibe buğzê jê bike.

Dîsa ji esrê seadetê mîsaleke dîtir ku bi celadeta îmanê hatiye raxistin jî ev e:

Resûlê Xuda berî Peymana Hudeybîyê **Hezretê Osman** wek qasid ji bo Mekkê şandibû. Heke çi qeder Hezretê Osman ji wan re got; em hatine ji bo umrê eda bikin û emê dîsa vegerin jî lêbelê mûşrikan destûr neda. Ji bilî vê jî wan Hezretê Osman xistin hebsa bin çavan û jê re gotin:

“-Heke tu bixwazî, tu dikarî Ka‘bê tewaf bikî!..”

Hemû misliman bi hesreta tewafê dihelîyan û di çavên wan de bêrîya Ka‘be hebû. Heta hinekan ji wan fikr dikir ku Hezretê

298. Îbnû Hîşam, IV, 12-13.

Osman wê Ka'bê tewaf bike û xwezîya xwe pê dianîn. Lêbelê wî sehabîyê dilsoj û sadiq ê ku xwe ji bo Xuda û Resûlê wî kiribû nezr, ji wan re got:

"Heta Hezretê Pêğember Ka'bê tewaf neke ez jî wê tewaf nakim! Ez bes li pey wî beytûllahê zîyaret dikim. Ew cihê ku Pêğemberê Xuda lê nayê qebûlkirin ez jî li wir nîn im..." Bi vê gotina xwe, wî bi weqûrtî û şexsîyeta Îslamê helwesteke mûhteşem raxist pêş çavan. [299]

Em jî wek ummeta wî divê heman hessasîyeta qelbê şerîf ê Mezinê xwe Pêğember hilgirin û biguhêzin. Ev jî bi hezkirina ji yên ku wî ji wan hez kiribe û bi zemkirina ji yên ku wî zema wan kiribe, çêdibe.

## ELAMETÊN MEHEBBETA RASTÎ

Di nav sohbetekê de **Sewban** zehf kûr û noqbûyî li Mezinê me Hebîbûllah dimeyzand. Wî wisan lê dimeyzand heta ku vê, bala Mezinê Aleman jî kişand. Wî bi merhemet jê pirs kir:

"-*Ya Sewban, ev çi halê te ye?*"

Evîndarê Pêğember Sewban wiha got:

"-Dêya min, bavê min û canê min bi gorî te be, ya Resûlellah! Hesreta te ew qeder min dihelîne, min diperitîne ku her gava xwe ya ji nûra te cuda derbas dikim ji min re dibe hicraneke cuda. Ez ji xwe re dikim derd; heke li dinyayê wiha be gelo wê li axretê çawa be. Li wir hûnê bi pêğemberan re bin. Cihê min jî ne diyar e ka ezê bibim çi û ezê li kuderê bibim! Ji bilî vê jî heke ez neçim cennetê,

299. Ehmed, IV, 324.

ezê bi temamî ji dîtina te mehrûm bibim! Ya Resûlê Xuda! Ha ev hal, min dihelîne, min diperitîne!"

Vêca Hezretê Pêğember ev mizgînî dayê:

"**Mirov bi hezkirîyên xwe re dibe**..." [300]

Elametê hezkirina ji Xuda û ji Resûlê wî jî, îtaet û teslîmîyet e. Heke em bi semîmîyet ji talîmatên Mezinê xwe re îtaet nekin, wê rûyê me ji xwestina şefaeta wî re nebe. Lewra îqaza di ayeta pîroz de zehf eşkere û net e:

"(Resûlê min!) **Bibêje: Heke hûn ji Xuda hez dikin li pey min werin ku Xuda jî ji we hez bike û li gunehên we bibûre**.." [301]

Ew peymanên mehebbetê ku xwediyê xwe ji bo îtaeta Xuda û Resûlê wî nabin, ji îddîayeke rijî û ziwa biwêdetir naçin. Îddîayên pevrebûna qelbî ya mirovên ku di ber hezkirîyê xwe de fedakarîyê nakin, wek pevrebûnên rijî û ziwa yên di navbera çar dîwaran de, ti qîmetekî îfade nakin.

Hezretê **Hesenê Besrî** dibêje:

"*Gelî mirovan! Hedîsa «mirov bi hezkirîyê xwe re ye.» şaş fehm nekin! Heta hûn amelên salihan nekin, hûn nabin ji salihan. Lewra cihû, li gorî xwe ji pêğemberên xwe hez dikin, lêbelê ne bi wan re ne.*" [302]

**Fudeyl bin Iyaz** -rehmetûllahî leyh- jî nefsa xwe wiha dikişand hesabê:

"Tu dixwazî di Cenneta Firdewsê de bi pêğemberan û siddîqan re bibî, lêbelê li hemberî vê te çi amel kir?! Te kîjan arzûya şehewî

300. Buxarî, Edeb, 96.
301. Alî Îmran, 3/31.
302. Îhya, II, 402.

ya xwe şikand? Te kîjan hiddeta xwe bezand? Tu çûyî serdana kîjan lêzimê xwe yê ku nehatibû serdana te? Te kîjan qusûra birayê xwe efû kir? Tu ji bo Xuda ji kîjan nêzîkê xwe dûr ketî, yan jî tu ji kîjan dûrê ji xwe nêzîk bûyî?..” [303]

**Ji bo Xuda hezkirin**: Ji bo hezkirinê, ji hezkirinê pê ve hemberîyeke din nas nake. Hezkirineke di vê maneyê de kûrahî û lezzetê bi ser îmanê ve dike. Di hedîsa şerîf de hatiye ragihandin; ew hersê mûmînên ku ev xusûsîyet di wan de hebin bes ew dikarin tamê ji lezzeta îmanê bixwin:

“*1. Ji her tiştî bêhtir ji Xuda û Resûlê wî hezkirin e,*

*2. Di piştî îmanê de ketina kufrê, bi qasî ketina nav êgir tehlûkedar dîtin e,*

*3. Ji bo Xuda hezkirin û ji bo Xuda buğzkirin e.*” [304]

Tabîî ye ku ji bo mirov karibe tamê ji lezzeta îmanê bixwe, şert e ku mehebbeta mirovî sirf ji bo Xuda be. Ev jî hinek elametên wê hene:

**Sehl** -rehmetûllahî eleyh- vê wiha îzah dike:

“*Elametê hezkirina ji Xuda, hezkirina ji Qur’ana Pîroz e. Elametê hezkirina ji Xuda û ji Qur’anê, hezkirina ji Mezinê me Pêğember e. Elametê hezkirina ji Pêğember, hezkirina ji Sunnetê ye. Elametê hezkirina ji Sunnetê, hezkirina ji axretê ye. Elametê hezkirina ji axretê, hez nekirina ji dinyayê (ne xapînabi cazîbeyên nefsanî) ye. Elametê hez nekirina ji dinyayê jî ji bilî miqdarê ku ji bo axretê bibe zad, wekî din ji malê wê dûrbûn e.*”

**Welhasil,** ewê ku bi rastî hez bike, ji hezkirîyên hezkirîyê xwe jî hez dike, ji mirovên ku hezkirîyê wan ji wan hez nake jî hez nakin

303. Îhya, II, 402.
304. Li Buxarî, Îman, 9, 14’an binêrin.

û zehf hezkirîyê xwe tînin bîra xwe. Çawa dema bi fezîlettirînê îmanê ji Mezinê me Resûlûllah hate pirskirin, wiha got:

"*Ji bo Xuda hez bike, ji bo Xuda nefret bike û zimanê xwe di zikrê Xuda de bişiğulîne.*"[305]

## MEHEBBET Û BUĞZA JI BO XUDA

Li gorî rîwayetan Ellah Teala ji **Hezretê Mûsa** dipirse, jê re dibêje:

*"-Ey Mûsa! Amelekî te heye ku te ew sirf ji bo min kiribe?"*

Mûsa got:

*"-Xudayê min! Min ji bo te nimêj kir. Min ji bo te rojî girt. Min ji bo te sedeqe dan. Min ji bo te secde birin. Min ji te re hemd kir. Min kitêba te xwend û min navê te di bîra xwe anîye."*

Ellah Teala jê re dibêje:

*"-Ya Mûsa! Nimêj rêbera te ye, rojî ji bo te mertal e, sedeqa ku te daye, ewê li ser te bibe sih, tesbîhên di sicûdê de wê di cennetê de ji bo te bibe dar. Xwendina te ji bo kitêba min wê koşk û horîyan ji te re temîn bike. Zikrkirina navê min ji bo te wê bibe rohnî. Te çi amel sirf ji bo min kiriye?"*

Vêca Mûsa got:

*"-Ya Rebbî! Naxwe amelekî ku ez sirf ji bo te bikim ji min re bibêje, da ku ez wî bikim."*

Ellah Teala jê re got:

305. Ehmed bın Henbel, Musned, 5/247.

*"-Ey Mûsa! Ma te ji bo min hîç dostek ji xwe re çêkir? Dîsa te li ser navê min hîç ti kes ji xwe re dijmin zanî?"*

Bi vî awayî Hezretê Mûsa fehm dike ku li cem Xuda amelê ji hemû amelan meqbûltir, ji bo wî hezkirin û li ser navê wî ji dijminên wî nefret-kirin e. [306]

Di vê mijarê de hatiye rîwayetkirin, wehî ji Îsa re jî hatibû:

"*Heke tu îbadetê hemû mexlûqên li erd û asîmanan bikî û têde ji bo min dostanî û ji bo min dijminahî nebe, ev îbadet hemû jî ti feydê nadin te!*"

Kemala hemû îbadet û mûamelatên me, bi qasî kûrahîya rûhî ya me dibe. Ji ber vê divê mehebbet jî û buğz jî di qelbê me de ne ji bo nefsa me be, lêbelê ew ji bo Xuda be.

Çawa ku Mezinê me Pêğember jî ji bilî îtîraza li heqîqetê û binpêkirina heqîyê wekî din ji bo tiştekî din hêrs nedibû. Lêbelê dema heqek dihate binpêkirin jî hêrsa wî sar nedibû heta ku ew heq nehatibe cihê xwe. Ew hîç ji bo xwe hêrs nedibû, ew ji bo xwe bi ti kesî re nediket mûnaqeşê.

Yanî mûmîn, divê buğza fillah ku ji esaleta îmanê ye bi hêrseke rijî û ziwa tevlîhev neke; divê ew zanibe ka ewê li kuderê, çi zemanî û çawa hêrs bibe. Divê ew diqqet bike ka hêrsa wî ji nefsa wî ye, yan jî ji îmana wî ye. Lewra hêrs, dema ji nefsê be mezmûm e. Ew aqilî ji serî dibe, şeytan êrîşê dibe ser wir. Heke hêrs ji bo Xuda be, heke wiha be ew kemal û fezîleteke mezin e.

Mezinê me **Hezretê Elî** ji bo Xuda ceng dikir, dema tam dikir ku kafirekî bikuje, wî kafirî ji şewta laşê xwe tif kire rûyê Hezretê Elî. Hezretê Elî li hemberî vê rewşê dest ji kuştina wî berda, di vê xusûsê de ev nimûneyeke mûstesna ye. Wî zilamî li hemberî vê

---

306. Mûkaşefetû'l-Qulûb, 86.

bizava esrarengîz aqilê wî jê negirt, wî kuştin û dan kuştin jibîr kir û bi heyret û dehşet pirs kir, jê re got:

"-Ya Elî! Te, tam dikir min bikuje, çima te dest ji min berda? Çi bû ku te dest ji hiddeteke dijwar berda û tu bi sikûneteke bêtarîf bêhna te fereh bû? Te wekî birûskê dikir lê bixe çi bû ku ji nişka ve wekî hewayeke sakin tu rawestîyayî. Hikmeta vê guherîna ji nişka ve çi ye? Ev halê te ji min re bû mûemmayek."

Hezretê Elî vê bersivê dide, dibêje:

"-Ez, bes di rêya Xuda de cîhadê dikim. Ez bes ji bo riza'ya Xuda li serê dijminên wî didim. Ez nefsa xwe jî hîç tevlî vê nakim.. Te jî tif kire rûyê min, te heqaret li min kir û te xwest min hêrs bike. Heke min di wê gavê de xwe bi dest hêrs û hiddetê ve berdaba, minê bi sebebeke adî ya wekî li pey nefsa xwe çûnê tu bikuştana. Haleveku ez, ne ji bo tetmînkirina ğurûra xwe şerr dikim, lêbelê ez ji bo riza'ya Xuda şerr dikim.

Ha li hemberî vê fezîletê, ew dijmin bi îmanê şerefmend dibe.

**Welhasil,** ew hêrsa ku aqil ji serê însanî dibe û wî ber bi xeta ve tahf dide, ew hêrs ji nefsê ye û îcab dike ku hefsarê wê were girêdan. Lêbelê dema li hemberî dîn, îman, exlaq û manewîyatê êrîşek, yan jî zulmek mewzûbehs bibe, hingê di nav halekî bêgane û giringî-pênedanê de bûn, ne girêdana hefsarê hêrsê ye. Bileks bizaveke wiha, ğefleteke kûr e. Ji bo naîlîyeta ji riza'ya Xuda re bi qasî qurpandina hêrsê, heke lazim bike ji bo Xuda hêrsbûn jî bi ehemmîyet e.

**Hezretê Ûmer** li hemberî kufr, zulm û neheqîyê heta tu bibêjî bes dijwar û baladest bû. Ji lewma li cihê ku ew lê bû ti kesî ji bo neheqîyê cur'et nedikir. Lewra bi sebeb hêrs û buğza ku ji bo Xuda di wî de hebû heke şeytan jî li wî rast bihata derhal rêya xwe ji ser wî divegerand û ji wî direvî.

Zatek ji ehlê keşfê diçe cem Hezretê **Cuneydê Beğdadî**. Dibîne ku wa ye şeytan bilezûbez ji cem wî diçe. Dema ew ji Hezretê Cuneydê Beğdadî nêzîk dibe, ji rewşa rûyê wî fehm dike ku ew zehf hêrs bûye û jê dipirse, jê re dibêje:

“Ey Cuneyd! Em dizanin ku dema însan hêrs dibe şeytan ji wî nêzîk dibe. Lêbelê digel ku hûn zehf hêrs bûne jî şeytan çima ji we direve? Hikmeta wê çi ye?”

Hezretê Cuneydê Beğdadî vê bersivê didiyê:

“-Ma tu nizanî ku em ji bo nefsa xwe hêrs nabin. Ji ber ku dîgerên me ji bo nefsa xwe hêrs dibin şeytan li ser wan mûsellet dibe. Ji ber ku hêrsa me ji bo Xuda ye, dema em hêrs dibin bi qasî ku şeytan di wê gavê de ji me direve, ew ti zemanekî din ew qeder ji me nareve.”

**Cenabê Heq vê qiwama qelbî ji bo me jî îhsan bike! Mehebbeta me jî û buğza me jî ji riza’ya îlahî ya xwe re mûwafiq bike! Heqîyê bi me heq bide zanîn û xwe pê girtina wî ji me re bike qismet, batilî jî bi me batil bide zanîn û xwe parastina ji wî jî bike nesîbê me!**

**Amîn...**



# Di Mehebbet Û Buğzê Desemîmîyet

*Gellek însanê ğafil di bin sulteya nefsanîyetê de, li hemberî med-cezîr û bahozên heyatê, wekî qefokên ku li ber lehîyê bi bêhestîyekê tên kişkişandin, sefaleta xwe seadet dizane. Ji ber wergerîyayî ne di ferqa wergerîna xwe de ye, xwehrbûyî jî ne di ferqa xwehrbûna xwe de ye, di rêya xwe rastkirin û rastbûnê de hest bi lizûma şanîdana ti hewldan û ğeyretekê nake.*

*Resûlê Xuda ferman dike, dibêje:*

*"... Ya yek ji we hûnê qencîyê li hev wesîyet bikin, ji xirabîyan bidin parastin û ji zulma zalimî re bibin asteng, yan jî Ellah Teala wê qelbê we (û fasiqan) bi hev bişibihîne..."* [307]

---

307. Ebûdawud, Melahim, 17/4336.

# DI MEHEBBET Û BUĞZÊ DE SEMÎMÎYET

Bi qasî hezkirina ji Xuda û hezkirina ji yên ku ew ji wan hez dike, bi qelbê xwe dûrbûna ji yên ku ew ji wan hez nake jî şertek ji şertên sihheta îmanê ye. Bi qasî mehebbet û hezkirina ji heq û xêrê, mûxalefet-nekirin û nefret-nekirina ji ziddê wan jî ku batil û şerr e, şanîdêrîyeke qusûr û zeîftîya îmanê ye. Di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Her kî ji bo Xuda hez bike, ji bo Xuda buğz bike, ji bo Xuda bide û ji bo Xuda nede, îmana wî gihaye kemalê.*" [308]

Li ser vî esasî mûmînekî kamil, wekî hemû fikrîyata xwe, hissîyata xwe jî li gorî riza'ya îlahî tenzîm dike. Ew ji kê hez bike ji bo Xuda jê hez dike, ji kê nefret bike jî ji bo Xuda jê nefret dike. Di bingeha hemû hissên wî de pîvan; "guncawbûna ji bo riza'ya Xuda" ye.

**Ebdûllah bin Ebbas** berîya sed salan gotiye:

"*Tu ji kê hez bikî ji bo Xuda jê hez bike! Tu çi terk bikî jî ji bo Xuda terk bike! Zanibe ku riza'ya Xuda wê bi vî awayî were qezenckirin. Heke na însên, nimêj kiriye, rojî girtiye, çûye heccê... Ewê feyda lazim ji van nebîne. Însan, mixabin îro êdî bûne ehlê dinyayê.* ***Mehebbet û nefretên*** *wan sirf ji bo menfîetên dinyayê bûne..*"

308. Tirmizî, Sifetû'l-qiyame, 60.

## DEMA HESSASÎYETÊN ÎMANÊ WINDA BIBIN..

Di mijara mehebbet û nefretê de dema fîraseta li ber çavan girtina riza'ya Xuda were windakirin, hingê însan dibe pêkenokê nefsa xwe. Ew di şûna hessasîyetên îmanê de, menfîetên dinyayî di plana pêş de digre. Bi vê sedemê destpê dike di bin navê "xweşbînî"yê de şaşîyan sivik dibîne û bi fikrên wekî "eman bila neşike, bila dilê wî nemîne, bila dostanî û menfîetên me zirar nebînin" bêdeng dimîne. Ev jî yek ji xirabîyên mezintirîn e ku însan karibe wê hem li xwe bike, hem jî karibe çavên xwe ji neheqîyên ku însan dike, bigre û bi vî awayî xirabîyê li wî jî bike.

Çawa Hezretê **Sufyanê Sewrî** jî wiha dibêje:

"*Însanek karekî şaş dike, heke ewê dîtirê ku îddîa dike birayê wî ye, bi nezaket wî îqaz neke, zanibin ku mehebbeta wî ne ji bo Xuda ye. Heke ew ji bo Xuda bûya, wî yê ew kesê ku li hemberî Xuda îsyan dike, bi uslûbeke ku ew jê fehm dike, îqaz bikira*."

Mûsamehayên nefsanî yên ku li hemberî kesên li ser halekî şaş in, têne şanîdan, ew zemîn û pêgehê hazir dike ji bo di nav civakê de guneh belav bibin, ew meşrû bêne dîtin û di encamê de ew bi alenî û bêperwa bêne kirin. Xirab-bûna însanî jî bi dana tawîzan ji tirsa windakirina menfîetên xwe, destpê kiriye.

**Mezinê me Pêğember** ev jî wiha xeber daye, gotiye:

"*(Xelkê Îsraîl) Di zemanê pêşîyê xwe de, dema yek didîtin ku wa ye xirabîyê dike, jê re digotin:*

*«Binêre heval! Ji Xuda bitirse û dest ji vê kirina xwe berde! Lewra kirina vî ji te re ne helal e!» û ew şîyar dikirin. Roja dûvre jî dema ew însan di aynî wezîyetê de didîtin (menfîeta wan dihate plana pêş êdî) bi wî re dixwarin û vedixwarin û ji bo karibin li cemê*

*rûnin jî careke din ew îqaz nedikirin. Ha ew dem, Ellah qelbê wan şibihande hev.*”

Dema Mezinê me Pêğember ev digotin pişta xwe dida cihekî û wilo diaxivî. Ji nişka ve wî xwe rast kir û axaftina xwe wiha dewam kir:

“*Ya hûn jî yê şîreta qencîyê li hev bikin, mena hev ji xirabîyê bikin, ji zulma zalimî re bibin asteng, yan jî Ellah Teala wê qelbên we bişibihîne hev û wekî ku lanet li zaroyên Îsraîl anîbû wê lanetê li we jî bîne.*” [309]

## ZEÎFTÎYA TAWÎZAN

Ew tawîzên ku bi fikra menfîetên dinyewî têne dayîn, îmanê li zeîftîyê dixin. Di roja me de karên dîn û dinyayê bi Qur’an û Sunnetê nayên wezinandin, çendîn tawîz têne dayîn ku ew îmanê dixin tehlûkê. Lêbelê ya xirabtir jî ev e; di nav vê teşqele û kêşmakêşê de çendîn însan hene, wekî qefokên ku li ber lehîyê bi bêhestîyekê têne kişkişandin, sefaleta xwe seadet dizane. Ji ber wergerîyayî ne di ferqa wergerîna xwe de ye, xwehrbûyî jî ne di ferqa xwehrbûna xwe de ye, di rêya xwe rastkirin û rastbûnê de hest bi lizûma şanîdana ti hewldan û ğeyretekê nake.

Di civaka me de herifîn û xirab-bûna exlaqîya ku bi sebeb îstîlaya kultura global têne jîyînê, mixabin hinek tetbîqatên ji rûhê îslamê re dijber bi xwe re anîne. Wisa ye ku mahîyetên ğeyrê îslamî xistine nav mûhîmtirîn sefhên heyatê, adeta şeytan jî bi wan re xistine şirîk. Haleveku ev îfadeyên ğezebê yên ku Ellah Teala ji wî şeytanê ku ji hizûra xwe qewirandî re gotin, ji bo însên îqazeke çi giring e:

309. Ebûdawud, Melahîm, 17/4336.

“**Ji navbera wan, yê ku tu bikarî wî bi dengê xwe jirêbibe; bi siwarên xwe û peyayên xwe wan di gunehan de noq bike; di mal û zaroyên wan de ji wan re bibe hevpar!**.” [310]

Bi rastî çendîn misliman dikarin, di mûhîmtirîn sefheyên heyatê yên wekî merasimên **dîlan**, **sunnet** û **cenazeyan** de dîn jibîr bikin. Haleveku ev, wextên zehf mûhîm in ku divê esl di wan de dîn were bibîranîn û ew li gorî nasnameya Îslamê bêne jîyînê. Lewra dîn; ne merasimeke xasê hinek zemanê dîyarkirî ye, lêbelê ew terzeke heyatê ye ku her dem û gava temenê însên tenzîm dike. Ji lewma mirov nikare wê di hinek wextan de bijî û di hinek wextên din de jî wê rake û li ser refan deyne.

Divê mirov her wexteke heyata xwe bi helwesteke îslamî ya ku heta tu bibêjî bes nezîh bijî, berevajî vê ku mirov di mûhîmtirîn sefheyên wê de bikeve naverokeke ku Ellah Teala li xwe bîne ğezebê, karekî ew qeder mekroh e, aynî wekî qedeheke ku miqdarek necaset di nav ava kehnîyê de dilop bike û wê bixe rewşeke ku êdî ew bi temamî neyê vexwarin.

Zemanê berê dîlan û sunnet di mizgeft û bexçan de dihatin kirin û Qur’ana Kerîm û mewlûd li wan dihatin xwendin. Zengîn û feqîr ji hev nedihatin veqetandin ew ji bo beşdarî-kirina di wan de dihatin bangkirin, di piştî îkraman de jî dûa dihatin kirin. Gazî û dengên “amîn, amîn!” ji bo rûhan dibû serkehnîya aramîyê. Bi taybetî jî hejar û ğerîb dihatin bangkirin, ji bo bidestxistina seadeta dinya û axretê ji dûayên wan dihate îstîfadekirin. Lewra bi ciddîyet ev îqaza nebewî ya ku dibêje: “*Ew xwarina dîlanê ya ku zengîn ji bo wê tên gazîkirin û feqîr nayên gazîkirin çi xwarineke xirab e!*” dihate rîayetkirin. Bi vî awayî dîwan û meclisên wisan pêk dihatin

310. Îsra, 17/4.

ku ji feyz û rûhanîyetê dije bûn û (ji pişkdaran re jî) hizûr û aramî bexş dikirin.

Di roja me de bûye ku êdî ewên piçekî îmkanên wan hebin pirranîya wan di nav şanîdana qewetê de merasimên dîlan û sunnetê xwe li cihên wekî hotêlên pirr bi stêr, yan jî restaûrantan de adeta li van cihên ku ji feqîran re qedeğe ne, îcra dikin. Ji bo van dîlanan jî komek mirovên xuyayî û bijarde têne gazîkirin û îkramên bi usûla bufe'ya vekirî ya ku goşt-xwerîyê teşwîq dike, têne pêşkêşkirin û li ser mewzûyên malayanî sohbet têne kirin. Heta di hinek dîlan û sunnetan de ew mey û şeraba ku bi awayekî qet'î heram e, her wekî ku ji bo wî zemanî serbestiyeke taybet hebe bi ğefleteke kûr tê vexwarin û xerckirin. Gellek dê-bavên ku dîndar têne zanîn, nimêj dikin û diçin heccê jî çavên xwe ji merasimên tije tevgerên ğeyrê Îslamî, bi mey-vexwerî û bi reqqase tije çavên xwe miç dikin û bi bawerîyên xwe re dikevin tezad û nakokîyan.

Ji bilî vê jî di roja me de, bûkên ku ji mala bavê xwe diçin dev mêran di naveroka wesîyet û şîretên ku divê li wan werin kirin de jî zehf guhertin çêbûye. Berê, dê-bavan ji keçên xwe re digotin:

"-Keça min! Tu çawa ji mala me bi cila sim-sipîya bûkanîyê derdikevî, tu yê wilo ji mala mêrê xwe jî bi kefenê sipî derkevî..." Bi vî awayî şîret û wesîyetên sedaqet û fedakarîyê li keçên xwe dikirin û dilê wan bi malbat û mala ku diçûnê xweş dikirin. Ji bilî vê jî, dema ew bi surprîzên tehl ên heyatê re jî rûbirû dihatin, şîreta sebrê lê dikirin û ev wesîyetê wiha lê dikirin, jê re digotin:

"-Keça min! Heke xwîn jî ji devê te were, tu bibêje; ez şirûba belalûkê vedixwim." Bi vî awayî pêşî hewldan dihat kirin ji bo tevna rûhanîya hêlîna ku ewê biçûyê bi awayekî sağlem dihat lêkirin. Lêbelê îro jî mixabin ji bûkan re wiha tê gotin:

"-Eman xwe nede perçiqandin, heke ew tiştekî ji te re bibêjin, zinhar ha di bin peyva wan de nemîne, tu jî du caran bi qasî xebera ji wan re xeberan bibêje.." xwedêgiravî bi tewsîyên dostane di serî de dikirin ku bûkan ji xwe re amadehîyên neyênî çêdikirin û bi pêş daraz û pêş hukman dihatin tije kirin. Tabîî ye ku wek li dehma van û di parelela wan de ji mirov re ne zor e ku naveroka şîret û qewîtîyên ku li zava'yan dihatin kirin jî texmîn bike.

Di roja me de divê mirov sersebebê zêdebûna hevberdanan, pevre-nebûrandinan, bedexlaqîyan, lecbazîyan, diltengîyan û buhranên rûhî jî di jibîrkirina van hessasîyetên manewî û yên wekî wan de lê bigere. Lewra divê mirov hîç jibîr neke ku di pişt her sebebê zahirî de tim û daîm sebebekî batinî û nihanî jî heye.

Dîsa merasimên **cenazeyan** ku ew yek ji nuqteyên manedartirînê heyatê ne jî, ew jî hatine tamsarkirin û xirabkirin û êdî bûne ku bi awayekî neyekser li ser mirîyan hêz û îtîbar tê şanîdan. Bi beşdarî-kirina xwedî meqamê bilind di merasima cenazeyî de îftîxar û şehnazî tê kirin. Dîsa hinek lêzimên cenazeyî navê kesên meşhûr ên ku di merasima cenazeyên wan de, yan jî di tazîyê de pişkdar bûne, eşkere dikin û teşekkur-nameyên xwe didin rojnameyan, ev jî xusûseke din e ku zirarê bi rûhanîyeta tazîyê digihînin.

Ji bilî vê jî divê ji bo rûhê mirî û mewta sedeqe werin dayîn û dûayên xêrê yên feqîr-fuqera werin wergirtin û rehma Cenabê Heq were telebkirin, menzara û dîmenên wekî şandina çelengan ku ev adet ji xrîstîyanîyê hatiye, tê raxistin bi ğeyrê mûsliman têne teşbîhkirin.

Haleveku mirov ji bo rizaya Xuda diçe ser cenazan, mirov ji mewta re dûa dike, mirov ji bo selametîya wan sedeqan belav dike û mirov li hemberî biradînê xwe jî deynê xwe yê wefadarîyê ji stûyê xwe eda dike. Çawa Mezinê me Pêğember jî dem bi dem ji sehabîyên xwe dipirsî, ji wan re digot:

"*Îro hûn di defînkirina cenazekekî de pişkdar bûn?*" bi vî awayî ew teşwîq dikirin ji bo bibin şirîkê derdê biradînê xwe û ji wan re bibin serkehnîya tesellîyê.

Lêbelê îro jî hinek mirov, di merasima cenazan de pişkdar dibin sirf ji bo ji lêzimên mewta re eyb çênebe û bi fikra ku bila îtîbara wî li cem wan kêm nebe. Bi vê sebebê însan ne ji bo cenazeyên ğerîb û feqîran elaqê şanî nadin, lêbelê ji bo cenazeyên xwedî meqam-mewqîyan, zengînan, xurtan û meşhûran zehftir elaqe şanî didin.

Çi hezîn e ku di roja me de şewba dinyewîbûn û mad-deparêzîyê geşt û gerê dike, hinek derdor ku hîn bûne her tiştî bi zêhnîyeteke materyalîst binirxînin, di rewşeke wisan de ne ku şeref û qîmetê însanî bi pere-pûlan û meqam-mewqîyên wan dipîvin. Ji bo wan dîlan, sunnet û cenaze adeta bûne ew cihên ku ev têde têne testkirin û ceribandin. Haleveku pîvana îzzet û şerefa însên; di her hal û karî de mûhafezekirina şexsîyet û karektêrê Îslamê ye, yanî îman e, teqwa ye, exlaqê xweş e.

Dilbendîya ji bo jîyana luks, dîmenên nefsanî û şehwanî yên ku di dîlan, sunnet û pîrozbahî û şahîyên din de têne raxistin, îsrafên ku têne kirin, nefikirîna nexweşên li hawîrdorê, pitikan, dilên mehzûn, ğemdar û westiyayî û bêyî derbaskirina di serê aqilê xwe de jî ku ew heqê evdan binpê dikin, ew sîlahên ku têne peqandin, fîşekên hewayî, çekên agirîn û qîrewîrên mûzîkî yên ku rehtker in hwd..

Ev hemû, di civaka me de çend tesîrên menfî yên dinyewîbûn û îstîlaya kultura ecnebî ne. Di ûrfa me ya dînî û millî de cih ji bo zêdegavîyên wiha nîn e.

## **REAKSÎYONA ÎMANÊ** (Aksûlamelî)

Şîareke mûmînan jî; ji xêrê re kilîl, ji şerrê re kilîd bûn e. Yanî di rêya Xuda de bi qasî xebatkirina ji bo bilindkirina heq û xêrê, gotina; ji bo mekrohîyên şeytanî û nefsanî na, ji şerr û batil re astengbûn jî lazimîyeke îmanê ye.

Mesela mûmînek ji bo cihekî tê vexwendin ku bi eşkerehî li wir qedeğeyên Xuda têne binpêkirin, ewê ku ew gazî kiribe kî dibe bila bibe, divê ew helwesta buğzê ya ku lazim dike, ji bo Xuda şanî bide. Lewra di ayeta pîroz de îqaz zehf eşkere û net e:

"**Ew** (mûmîn), **berê xwe ji tiştên pûç û bêfeyde vedigerînin**." [311]

Yanî dema ferman li mûmînan hatibe kirin ku heta ew berê xwe ji tiştên pûç û bêfeyde jî vegerînin, hîç mirov nikare bihizire; ewê di dawetiyekê de pişkdar bibe ku ji vê jî bêhtir ew ğezeba Xuda bi ser pişkdaran de bîne û wî hêrs bike. Mûmînekî ku bi tiştekî wiha re rûbirû were, divê bi zimanekî mûnasib wezîfa xwe ya îqazê bîne cih. Heke ew kesê ku tê îqazkirin jî bibêje:

"-Yahû di vê serdemê de êdî divê mirov bi tiştên wiha ve nemîne, hûn jî ji vê derbas bibin.."û bi peyvên wisan amîyane û mîrîtîyê fermanên Xuda sivik û nehêja wergire, -ku serê van cure peyvan heta bi kufrê diçe- êdî îcab dike ku ew di wê dawetiyê de pişkdar nebe û ji bo Xuda reaksîyonekê şanî bide. Lewra mûmîn, di her zemanî û her mekanî de şahidên Xuda ne.

Çawa Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Ha bi vî awayî me hûn kirine milletekî mûtedil ji bo hûn li ser mirovan bibin şahid û Pêğember jî li ser we bibe şahid**..." [312]

311. Mûmînûn,233.
312. Beqere, 2/143.

Dîsa mûesseseyeke ticarî ya ku mirov bikeviyê û bibîne ku wa ye têde maka xirabîyan mey jî tê firotin, divê mirov tiştekî ji wir nekirre û derhal ji wir derkeve here. Divê xwediyê wir jî fehm bike ku ji ber şerab li wir tê firotin bi kêmasî ew hinek mûşterî û kirryarên xwe winda dike. Îcab dike ku mirov vê reaksîyona îmanê li hemberî hemû menfî û xirabîyan jî şanî bide.

Lewra îzharkirina nefreta ku li hemberî ğeletîyan tê hiskirin, li ser rûhê mirovên ku ew ğeletî kirine ji rexê xilasî û îslaha wan ve şopeke mûsbet dihêle. Çi qeder ev bandorên mûsbet zêde bibin, tê hêvîkirin ku ew kes jî ğeletîyên xwe fehm bike û berê xwe bide ser heqî û xêrê.

Lêbelê heke mirov li hemberî binpêkirina qedeğeyên Xuda laqeyd û bêhelwest bimîne, ji vê jî zêdetir heke ew xweş were dîtin, êdî meyla xwe dana ser van, ji bo kesên ğafil û gunehkar wekî nağmeyeke şîrîna mûsîqî, xweş, tebîî û normal tê. Berê xwe dana ser gunehan zêde dibe. Ji pirnisîbûna gunehî neke behs, wê însanî bixe şaşomaşo-bûneke wisan berbat ku ew bi gunehên xwe şahnazîyê bike.

Dema ji bo menfîetên dinyayî yên sê-qurûşî bi rojan xwepêşandanên protestoyî û grevên birçîbûnê tên kirin, di xusûsên dînî û manewî de ji bo Xuda şanî-nedana helwest û reaksîyonekê, sade tezahureke nuqsanîya ğeyreta dînî ye.

## NEXWEŞÎYA TEQLÎDÊ

Xusûseke din ji xusûsên ku îmanê diavêjin xeterê jî nexweşîya xwe şibihandina ğeyrê mûsliman, yan fasiqan û teqlîdkirina terzên heyata nefsanî ya wan e. Ji hevketinên di bingeha îmanê de, yan jî pirranîya berdîberdanên exlaqî û fikrî, bi van cure teqlîdan destpê dike. Êdî bi derbasbûna zemanî re teqlîd ji mirovî re dibe adet û xuy. Di dawîyê de pevrebûna şeklî ber bi pevrebûna zêhnî ve diçe, pevrebûna zêhnî jî bi derbasbûna zemanî re heta ber bi pevrebûna qelbî ve jî diçe. Ji lewma di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Kî hewl bide we bişibihîne qewmekî, ew jî ji wan e*." [313]

Ev hukm, heke çi qeder bi sembolên dînî re elaqedar be jî heta di tiştên ku sembol nayên jimartin de jî xwe şibihandina bi ehlê kufrê, bêşiwar ji xetayê ne dûr û bêrî ye.

Meyla teqlîdê, bêşiwar di fitreta her însanî de -hindik, yan jî gellek- heye. Di roja me de ji hêla exlaqê Îslamî ve bi pîvaneke mezin serwerbûna xirab-bûnê tê dîtin. Dema mirov nimûneyên sipehî û nimûneyên xirab nimûneyên li hev qiyas bikin, nimûneyên xirab zehftir in. Naxwe di zemanê me de ji bo rast bikaranîna meyla teqlîdê îhtiyac bi nezaketeke mezintir heye. Çawa bi mîlyonan însan, sirf bi sebeb meyla teqlîdê bi qîmettirîn zemanê xwe bi mûnaqeşên sîyaset û sporê re zayî dikin, lêbelê ev li ber çavan hîç nayê girtin. Lakin di eslê xwe de hinek tezahurên vê yên dîtir nê zehf mûhîm jî hene:

Mesela ew ciwanên ku li ser singa wan îfadeya reklameke bi (zimanê) ecnebî yan jî bi resmekî ne guncaw diçin mizgeftên şerîf, mixabin ji ber ku nayên îqazkirin haya wan ji mekrohîya vê helwesta ku ji weqûrtîya Îslamê re dijber e, çênabe. Her wekî ku

313. Ebûdawud, Lîbas, 4/4031.

mûmînan jî jibîr kiriye û xebera wan jê nîn e ku Cenabê Heq bi vî sifetî; “**ummeta ku şîreta qencîyê dikin û mena ji xirabîyê dikin**” wan dide naskirin. Haleveku li hemberî şaşîyan şanîdana aksûlamel li hemberî wê jî bi peyvên sipehî û bi hikmet tewsîyekirina rastîyê, bi ferzîyeteke bi qewet li ser her mislimanî ferz e. Ji lewma di ayeta pîroz de hatiye gotin:

“**Şîret li wan bike û di bara wan bi xwe de ji wan re**: « قَوْلاً بَلِيغا» **peyveke bi bandor bibêje**.” [314] divê mûmîn (li hemberî xeta û şaşîyan) bi zimanekî eşkere û bi bandor heqîqetan îfade bike.

Ji ber ku xwe neşibihandina bi ğeyrê mûsliman, yek ji mûhîmtirîn şertên mûhafezekirina şexsîyet û weqûrtîya Îslamê ye, **Mezinê me** di rojîya 10ê Mûherremê de ji bo mûxalefet-kirina cihûyên ku wan jî di aynî rojê de rojî digirtin, ferman kiriye ku misilman rojeke din berî wê yan jî piştî wê jî rojî bigrin.. Yanî di îbadetan de xwe şibihandina me ji bo wan qedeğe kiriye.

Heke di qelb de hessasîyeta buğzkirinê ya ji bo Xuda winda bibe, hingê di encama teqlîdkirina terzê heyata ğeyrê mûsliman de wê destpê bike û hêdî hêdî di navbera (me û) wan de ferq ji holê rabe. Heke em îmanê werîsekî sitûr qebûl bikin, dema hesta mûxalefeta ji bo Xuda zeîf bibe, bêşiwar wê destpê bike ku rîsê wêrîs yek bi yek biqetin.

Bav û bapîrên me Osmanîyan, li ser coğrafîyayeke 24 mîlyon kîlo metrên çarçikî desthilat bûn bi sed salan bi gellek millet, dîn, ziman û nijadên cuda cuda re jîyan. Lêbelê tim û daîm bi îzzet û şerefa Îslamê urfê xwe dane jîyandin. Ne ku bikevin bin bandora ğeyrê mûsliman, lêbelê bi awayê ku bandora xwe li wan bikin bi şeklê sipehîtirîn dînê xwe û kultura xwe temsîl kirine. Heta di nêrî-

314. Nîsa, 4/63.

na ğeyrê mûsliman bi xwe de jî xwarinên Tirkan, şîranîyên Tirkan û adetên Tirkan meşhûr bûne.

Lêbelê îro bi sebebên abûrî ji ber ku em di nav dewletên dinyayê de ketine rêzên paş çendîn adetên ku bi kultura me ya resen re ahengsaz nabin ketine nav jîyana me. Di cil û bergan, dîlan, şahîyan, sersal û têgihiştinên tatîlan de heta bigihîje xwedî-kirina kûçikan li malan di gellek sefhên heyatê de şibihîna bi ğeyrê mûsliman zêde bûne.

Ji bilî vê jî bi bayê **moda**'ya ku ğeyrê mûslim û biyanî li ba dixin êdî di nav civaka me de dilbendiya markayê anîye meydanê. Zerûrî ye ku mûmînên xwedî besîret, meyla van nekin, bi derfetên xwe hemleyên îstîlaya kultura globala li ser kultura me ya resen destek nekin, bileks bila ew li hemberî van helwesteke bi şexsîyet şanî bide.

Divê terza cilên me, tertîbat û dekora mala me, awayê jîyana me û hwd. bi şekl, reng û terzê ku Îslamê tarîf kiriye re ahengsaz bin. Çawa **Hezretê ûmer** wek nimûneyeke tezahura vê hessasîyetê dema artêş dişand Azerbaycan û Dağistanê di xusûsa teqlîd nekirina cil, xwarin û urf û adetên pûtperestên li wir de îqazên ciddî li wan kiribûn.

## DÎYALOGA BI ĞEYRÊ MÛSLIMAN RE..

Di roja me de ji bo mirov awayê rewa û meşrû ya "xweşbînî" û "dîyalog" a ku zehf tê îfadekirin rast fehm bike, îcab dike mirov pêşî "**terzê nêrîna Îslamê li însanî**" zanibe.

Îslam, çendîn ğeyrê mûslim bin jî ferman dike ku mirov bi nezara şefqeta Xaliq li însên binêre. Ew ji bo mûhafezekirina heq û hiqûqê mirovên ku bi erênî bersiva banga hîdayetê nedane jî

îtînayê şanî dide. Ew peymana ku Mezinê me Pêğember li Medînê bi cihûyan re çêkiriye, ji bo vê nimûneyeke tîpîk e.

Li gorî vê, divê mirov bi ti awayan ji mûhtewa'ya dîn tawîz nede, lêbelê mirov di mijara hiqûqê welatîbûnê, yan jî berjewendîyên dewletê de bi ğeyrê mûsliman re li ser pevre hereket-kirinê peymanê çêke, ev xusûs ğem nake.

Di mûnasebetên însanî de jî şîreta Îslamê; **şefqet** û **merhemet** e. Çawa **Yala bin Mûrre** dibêje:

"*Ez, li cem Mezinê me Pêğember di gellek rêwîtîyan de pişkdar bûm. Resûlê Xuda di rêyan de ku li termê kîjan însanî rast dihat, derhal bi definkirina wî ferman dikir; nedipirsî ka ew misliman e, yan jî kafir e.*" [315]

Dîsa rojekê Mezinê me Resûlûllah cenazeyek di pêşîya wî re derbas bû. Resûlê Xuda rabû ser pêyan. Jê re hate gotin:

*"-Ya Resûlellah! Ew termê yekî cihû bû!.."*

Resûlûllah jî wiha bersiva wî da:

"-*Ma ew jî ne însan e*?" [316]

Îslam ferman dike ku mirov li hemberî heq û hiqûqê ğeyrê mûsliman jî heta tu bibêjî bes, bi titîzî tevbigere. **Fatîh Sultan Mehmed Xan** ê ku Îstanbûl fetih kiriye, dema ew çû nav bajêr, wî bi hessasîyeta îmanê ev talîmat da leşkerên xwe, ev jî wê titîzîyê çi xweş îzah dike:

"*.. Zinhar destê xwe li mirovên ku li ber xwe nedane û emanê dixwazin, nedin ha! Zirareke biçûktirîn jî bi jinan, zarokan, yextiyaran û nexweşan negihînin!..*"

315. Hakim, I, 5261374.
316. Buxarî,, Cenaiz, 50.

Fatîh Sultan di wextê ku hê navê beyan-nameya mafên mirovan jî nehatî bihîstin, li hemberî vê helwesta dadmend û mûsamehakara ku wî tetbîqkirî, hêstir ji çavê patrîkê Îstanbûlê barîn, xwe avêt ber pêyê Fatîh, lêbelê Fatîh ew rakir jipêya û jê re got:

"*Di dînê me de wekî ku mirov ji Xuda re here sicûdê, xwe wilo li hemberî însanan tewandin, heram e. Rabin ser xwe! Ez her cure heq û azadîyan li we û bi te re li hemû rîstiyanan jî vedigerînim. Ji vêga û pê de êdî di xusûsa heyata xwe û azadîya xwe de ji ğezeba şahaneya min netirsin!..*"

Bi xêra vê helwesta dadmend û mûsamehakara ku Bapîrên me Osmanîyan li hemberî ğeyrê mûsliman şanî dane, li Rûmelîyê digel ku bi nifûsa xwe kêmar bûne jî lêbelê dîsa karîne bi sed salan silh, aramî û hizûrê temîn bikin. Ji bilî vê jî ev hal, ji bo hîdayeta gellek civakên xeyrê mûslim jî bûye wesîle. Lewra Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Bi ehlê kitêban re nekoşin, heke ne bi rêbaza sipehîtirîn be! Lêbelê ji wan; ewên ku zulm kirine, ew cuda ne. Bibêjin: Me îman, bi wehîya ku ji me re hatiye xwarê û bi wehîya ku ji we re jî** (berî tehrîfkirinê) **hatiye, aniye. Xudayê me û Xwadeyê we yek e û em ji wî re berdest bûne**." [317]

Dîsa bi mûqteza'ya vê ayetê û yên dîtir ên wekî vê di piştî fetha Kosova û Bosna'yê de mislimanên temîz ên Anadokûyê yên ku ji bo wan deveran hatine şandin, wan bi awayekî nimûneyî şexsîyet, exlaq û nasnameya Îslamê jîyan û temsîl kirin, û di encamê de ew ji bo hîdayeta xelkê herêmê bûne wesîle..

Ji bilî vê zulm û neheqî; çawa ne durust e ku ew li mislimanan werin kirin, aynî wisan ne durust e ku ew li ğeyrê mûsliman jî werin kirin. Heke ew li kê jî werin kirin mesûlîyeteke girana qiyametê

317. Enkebût, 29/49.

ye. Dîsa Fatîh Sultan Mehmed û avasazekî krîstîyan li hev bûbûne dawedar û dadgehê jî li dijî padîşah qerar dabû, ev jî ji bo hessasîyeta tewzîkirina heq û hiqûqê Îslamê, mîsaleke mûhteşem e.

## DI DÎYALOGA BI ĞEYRÊ MÛSLIMAN RE HESSASÎYETÊN BINGEHÎN

Hemû dinya ji bo doz û bangewazîya Îslamê meydan e. Mezinê me Pêğember li gorî şertên zemanê ku têde jîyaye ji bo şah û qralên gellek welatan qasid şandine û bi wan re cure dîyalogek daniye.. Sehabî jî di nav kelecana teblîğê de hest bi ti westinekê nekirine û ew heta bi Çîn û Semerqendê jî çûne.

Di roja me de hema bibêje mesafa hemû astengên ragihanê ji holê hatine rakirin. Bi taybetî ji bo bersiv-dana wan îthamên neheq û îftîrayên ku dixin stûyê Îslamê, wecibeyeke mezin e ku em bi awayekî sipehî ji temamê dinyayê re îzah bikin; Îslam, ne dînê terorê ye. Bileks Pêğemberê me di 23 salên wezîfa pêğembertiya we de qismekî mûhîm ji wî zemanî di têkoşîna li dijî terorê de û di ğeyreta lihevanîna dozên xwînî yên qebîleyên Ereban de derbas kiriye. Di eslê xwe de Îslam, dînê medenîyet û însanîyetê ye û ew tim û daîm heq-hiqûqan tewzî dike.

1. Îcab dike mirov ti zemanekî jibîr neke: **Li cem Xuda tekane dînê heq, Îslam** e. Di esasê xwe de Krîstîyanî û Cihûtî jî heq bûne. Lêbelê di nav zemanî de tehrîfat li wan ketiye. Di encama van tehrîfatan de krîstîyanî şemitiye û ketiye teslîsê (sêdêrînê); cihûtî jî ketiye rewşeke antropomorfîk. Herçî Îslam e, ew jî dînê tewhîdê (yekdêrînê) ye. Ji lewma di navbera dînên dîger û dînê Îslamê de bi ti awayekî te'lîf nabe mijara axaftinê.

2. Mijareke din jî; “**mûhafeza îxlasê**” ye. Di Qur’ana Pîroz de ji bo vê wek mîsal ew dîyaloga ku Mûsa bi Firewn re çêkirî tê zikrkirin.

Mûsa ji bo teblîğê diçe cem Firewn, bi zimanekî leyyîn/nerm dîyalogê pê re datîne. Lêbelê di esnaya dîyalogê de hîç ti tawîzekî ji sînorên şer‘î nade. Di encama vê îxlasa wî de sêhrbazên ku Firewn ew ji bo mûsabeqê derxistibûn hemberî Mûsa bi hîdayetê şerefmend bûne û ku bihayê wê dana canê wan be jî ew li ser îmanê sebatê şanî didin.

3. Îslamê, ji bo gihiştina ğayekeke meşrû dîsa metodên meşrû telqîn û şîret kirine. **Bi metodeke ğeyrê meşrû gihiştina ğayeya meşrû çênabe**. Ev jî yek ji hessasîyetên bingehîn ê Îslamê ye. 23 salên heyata nebewî ya Mezinê me Pêğember ji bo vê mezintirîn delîl e. Mezinê me ji bo teblîğa Îslamê, hîç serî li ti metodekê nedaye ku Xuda ew teswîb (rast û durust) nekiribe.

Yek ji manedartirîn mîsalên vê, di Herba Bedrê de hatiye jîyîn. Wekî ku malûm e di Herba Bedrê de hijmara mislimanan bi qasî sêyeka mûşrikan bûye. Mezinê me Pêğember, Hezretê Elî û Ebû Lubabe bi dor li hêştirekê siwar dikirin û wilo diçû rêwîtîyê. Du mûşrik ji xelkê Medînê, di rê de digihîjin artêşê û dibêjin em dixwazin di sefa mislimanan de şerr bikin.

Mezinê me Resûlê Xuda ji wan dipirse, dibêje:

“-*Ma hûn bi me re derketin rê*?”

Mûşrikê bi navê Xubeyb got:

“-Na, tu kurê xweha me yî û tu cîranê me yî. Em bi qewmê xwe re ji bo ğenîmetê derketine seferê!”

Mezinê me Pêğember ji wan pirs kir, ji wan re got:

"-Ma te îman bi Xuda û Resûlê wî anîye? (Ma tu qebûl dikî ku ez pêğemberê Xuda me)?"

Çi dema Xubeyb bersiva wî da, jê re got:

"-Ne xêr!" vêca Hezretê Pêğember got:

"-*Naxwe vegerin! (Xuda ji me re kafî ye.) Îhtiyaca me bi arîkarîye mûşrikekî nîn e!..*"

Xubeyb israr kir, got:

"-Qewmê min baş dizane ku ez di şerr de çi qeder mêrxas im û ez cengewarekî wisa me ku di singa neyaran de birînan vedikim. Heke misliman nebim jî ma çênabe ku ez di hemberî ğenîmê de li cem te şerr bikim?"

Pêğemberê me jê re got:

"-*Na, pêşî misliman bibe! Piştre şerr bike!*" û Resûlûllah li ser rêya xwe dewam kir.

Piştî midetekî Xubeyb dîsa hat û pêşnîyara xwe dubare kir. Lêbelê bersiv neguherî. Serbazên Resûlûllah di hemberî ordîya qerebaliğa mûşrikan de zehf hindik bûn lêbelê vê biryardarî û teslîmîyeta Resûlûllah, bandoreke kûr li Xubeyb kir. Di dawîyê de ew hat bi coşeke mezin mislimanbûna xwe ragihand. Mezinê me bi mislimanbûna wî zehf keyfxweş bû û got:

"-*Ha vêga tu çi bixwazî, bike!*" [318]

**Welhasil,** îcab dike mirov di mûnasebetên bi ğeyrê mûsliman re ji hukmên Xuda, sunnetên Resûlûllah û ji hessasîyetên di teblîğê de tawîz nede. Divê mirov jibîr neke ku di vê mijarê de tawîzeke

318. Li Mûslim, Cîhad, 150'an binêrin.

biçûktirîn jî wê zirarê bigihîne îmana mirovî. Lewra Xuda di ayetên pîroz de dibêje:

"**Kî ji Pêğember re îtaet bike, wî ji Xuda re îtaet kiriye**." [319]

"**Gelî yên ku îman anîne! Nekevin pêşîya Xuda û Pêğemberê wî. Ji Xuda bitirsin**.." [320]

Li rexê din divê mirov jibîr neke ku hinek tawîzên ku di dîyalogên bi ğeyrê mûsliman re tên raxistin ew şaşî ya şexsê wan kesan e ku wê xetayê dikin. Bi sebeb van bûyerên mûnferid îcab dike mirov bi şiûra biratîya Îslamê xwe ji reşkirina hinek civakên mûmîn ên ehlê îstîqametê biparêze. Lewra divê mirov jibîr neke ku ev cure serxweveçûn, dilê mûmînên ku di nav rîayetkirina hessasîyeta Îslamê de ğeyreta teblîğê şanî didin, rencîde dike.

**Cenabê Heq, van hessasîyetan ji qelbê me kêm neke!**

**Ya Rebbî! Îmanê bi me bide hezkirin û qelbên me bi mehebbeta îmanê mûzeyyen bike! Ji me re xirab-dîtina kufr, fisq û îsyanê, bi awayekî layiq xwe parastina ji wan û dan parastina ji wan jî bike nesîb! Me bigihîne wê zumreya bendeyên salih ên xwe ku te ew ji bo xêrê kirine kilîl û ew ji bo şerrê jî kirine kilîd!**

**Amîn...**

319. Nîsa, 4/80.
320. Hucürat, 49/1.




# Fanîtî (Mirokîtî) Jibîr Nekirin

*Ew civanê mûtleqê me yê bi melaîketê mirinê re gelo wê di nav dîmeneke çawa de tehqîq bibe? Gelo emê bi wî re di halê sicûdê de, yan jî di dema bizaveke şaş de rûbirû bên? Divê em zehf zêde tefekkur bikin; gelo hevoka dawîya ku ji ser zimanê me birije wê çi be?..*

*Hezretê Cuneydê Beğdadî dibêje:*

*“Rojeke dinyayê, ji saleke axretê bi xêrtir e. Lewra di rojeke dinyayê de ji bo tehsîlkirina (bidestxistina) riza’ya îlahî îmkan heye. Lêbelê li axretê, wekî dinyayê ji bo kirin û qezenckirina amelên salih îmkan nîn in. Lewra li wir sade hesabê emr heye.*

# FANÎTÎ (MIROKÎTÎ) JIBÎR NEKIRIN

Di îmtîhana dinyayê de yek ji mezintirîn astengên ku divê mirov her ji wan derbas bibe “**îblîs**” e, ya din jî “**nefs**” e. Nefs, bi umûmîyet wan temayulên menfî yên ku însan jê re rûbirû dimîne, tîne aqilê mirov. Gellek ji menfîtîyên nefsanî jî ji arzûya “**îsyana li hemberî fanîtîyê**” û “**baqî bûn**” tên ku ji xwe ew di tebîetê însên de hene.

Bi rastî însan, hîç naxwaze ew nîmetên ku ji wan re bûye xwedî ji dest wî biçin, ew tim û daîm ebedîtî û nemirinê arzû dike. Hinek mirov bi xwedîbûna ji bo ewladan li ebedîtîyê digerin û berdewamîya kinêsa xwe heta bi qiyametê dixwazin. Hinek mirov bi dilbendî û îhtîmama zêdetir bi bedena xwe li ebedîtîyê digerin û jîyîna bi sed salan arzû dikin. Hinek mirov bi li pey xwe hiştina eserên mayende li ebedîyetê digerin û dixwazin di piştî mirina wan de jî navê wan berdewam bimînin. Hinek mirov bi li ser hev komkirina mal û milk li ebedîyetê digerin, xwe dispêrin hêza serweta xwe û dixwazin wê ji bo hebûna xwe bixin palpişt û sitûn.

Çawa di ayeta pîroz de hatiye gotin:

“(Xwelî li wî kesî be ku) **zen bike malê wî dê wî ebedî bike**.” [321]

Haleveku li ser dinyayê gera li ebedîyetê, yan zenkirina ku rojên bextewar hîç xilas nabin û nîmetên wî hîç ti zemanî ji dest

321. Hûmeze, 104/3.

naçin; aynî wekî li çolê xapîna bi leylan û seravan wisan xeyaleke pûç û umîdeke beyhûde ye.

Dostekî Heq çi xweş dibêje:

"*Li dinyayê ebedîyetê nexwaze! Ew di wê de nîn e heta ku bide te!*"

Naxwe divê em hîç jibîr nekin ku em li dinyayê mêhvan in, wadeya seneda emr wê di rojeke mechûl de tije bibe û heyata esasî û ebedî jî heyata axretê ye. Lewra ti zindîyek nîn e ku Cenabê Heq ew ji fanîtîyê mûaf girtibe. Jibîrkirina fanîtîyê; îfadeya hemaqeteke wisa ye her wekî ku mirov serê xwe bixe nav sêlhê û wê xilasbûna ji tehlûkê zen bike. Lêbelê çi hezîn û ğemnak e ku bi ekserîyet helwesta însên li hemberî mirinê ji vê ne zehf ferqdartir e. Gellek însan hene di şûna ku bi evdînîyeke sipehî ji Xuda re, mirina xwe sipehî bike de, di nav sawa wê de emrekî ğafilane temenê xwe dewam dikin.

## DU TECELLÎYÊN ZID (HEVDIJ)

**Wehb bin Munebbih** -rehmetûllahî eleyh- vedibêje:

Hukmdarekî dema hazirîya xwe dikir ji bo biçe cihekî ji nav cihên bêjimar ên ku li xwe bike, ciha sipehîtirîn kîjan bû û ji nav gellek hespên ku li wan siwar bibe jî kîjan hesp rehwal û çavtêrker bû ew dibijardin. Wî bi zilamên xwe re bi helwesteke mûhteşem, xwe mezin dikirin û bi zirt û fort kirin diderket rê. Di rê de yekî ser û mil perîşan, xwe bi hefsarê hespê wî girt. Hukmdar bi hêrs qîr dayê û jê re got:

*"-Tu kî yî, tu li hemberî min kî yî, ji pêşîya min rabe ser xwe, here!"*

Wî zilamî bi awayekî aram jê re got:

*“-Min hinek xeber hene, ezê ji te re bibêjim! Ew ji bo te meseleyeke heyatî ye..”*

Çi dema hukmdar bi meraq û bi hiddet jê re got:

*“-Zû bibêje!” Wî zilamî jê re got:*

*“-Ew bi dizî ye, xwe bitewîne, ezê di guhê te de bibêjim!”*

Hukmdarî xwe tewand, wî zilamî jê re got:

*“-Ez Ezraîl im, ez hatime ji bo rûhê te bistînim!”*

Hukmdar ji nişka ve şaşomaşo bû, kete telaşê û destpê kir eman jê xwest, jê re got:

*“-Tiştek nabe, piçekê destûrê bide min!..”*

Ezraîl jî jê re got:

*“-Ne xêr, destûr ji te re nîn e. Tu yê negihêjî malbata xwe jî!”* û li wir rûhê hukmdarî stand.

**Ebûbekr** di nesîheteke xwe ya tije hikmet de wiha dibêje:

“*Ji şohretê bireve ku şeref te li xwe bike. Ji mirinê re li kar be ku heyata ebedî ji te re were bexşkirin.*”

Piştre Ezraîl li ser rêya xwe dewam kir û li evdekî mûmînê salih rast hat. Piştî silav lê kir, jê re got:

“-Îşê min bi te re heye, ezê vê bi dizî ji te re bibêjim.” Û xwe bi ber guhê wî ve tewand û jê re got; ez Ezraîl im. Ew evdê mûmîn bi vê keyfxweş bû û jê re got:

“-*Tu bi xêr hatî, ji mêj ve min çavnêrîya te dikir. Hemû ğeyreta min ji bo vê bû; ez nuqsanî û kêmasîyên xwe berteref bikim û dema xwe ya mirinê sipehî bikim. Ez tim û daîm di nav endîşeya nefesa dawîya xwe û hazirîya wê de bûm.*”

Ezraîl jê re got:

"-*Naxwe karê ku te dikir, wî temam bike*."

Wî zilamî jê re got:

"-*Mûhîmtirîn karê min gihiştina Ellah Teala ye, wuslet e*."

Vêca melaîketê mirinê jê re got:

"-*Tu mirina xwe li ser kîjan halî bixwazî, ezê rûhê te li ser wî halî bistînim*."

Wî zilamî jê pirs kir, jê re got:

"-*Ma ji vê re îmkan heye?*"

Melaîketî jê re got:

"-*Erê, ji bo te, fermana vê li min hate kirin*."

Wî zilamî jê re got:

"-*Naxwe ezê desmêja xwe nû bikim, ezê dest bi nimêjê bikim û dema serê min di sicûdê de be tu rûhê min bistîne*." Bi rastî jî wisan bû. [322]

**Hezretê Mewlana** mirina evîndarên Heq çi xwe teswîr dike, dibêje:

"*Mirina bedenê ji bo ehlê sirran yedîgareke îlahî ye. Ma ji bo zêrê xalis zîyanek ji meqesî tê*?"

Ha ev dîmenek ji heyateke ğafilane ya ku encama wê tije tirs bûye.. Li alîyê din, mirovek heye di nav îdraka fanîtîyê de bûye, her dem bi amelên salih ên xwe ji bo mirinê hazir bûye, ji keder û telaşê azade bûye, dema nefesa dawîna xwe tije hizûr bûye.. Ha ev mirin ji bo hinek mirovan bûye kabûs, bi vegotina Hezretê Mewlana

322. Îhya, IV, 834-5.

jî ew ji bo hinekan “**şeva arûsê**” (şeva dîlanê) ye û bûye wusleteke bêdawî ya qiwama dilî..

Divê em jî dem bi dem tefekkur bikin; civanê mûtleqê me yê bi melaîketê mirinê re gelo wê di nav dîmeneke çawa de tehqîq bibe? Gelo emê bi wî re di halê sicûdê de, yan jî di dema bizaveke şaş de rûbirû bên? Divê em zehf zêde tefekkur bikin; gelo hevoka dawîya ku ji ser zimanê me birije, wê çi be?..

## LI SER YÊ MIRÎ NEGRÎ, LI SER XWE BIGRÎ...

Hezretê **Hesenê Besrî** dibêje:

“Kî rizqê xwe xilas bike û emrê xwe temam bike, Ezraîl rûhê wî distîne. Kesên li mala yê mirî feryad û fîğan dikin. Ezraîl bi zimanê halê xwe ji wan re dibêje:

"Tu çi digrî? Min ne rizqê vî zilamî xwariye, ne jî min emrê wî qut kiriye. Rizqê wî xilas bû, emrê wî bi dawîyê giha, emrê Heq hate cih, talîmata îlahî hat, min jî rûhê wî stand. Pûç negrîn, ezê tim û daîm werim vir û herim, ezê ti kesî ji we nehêlim."

Hezretê **Hesenê Besrî** peyvên xwe wiha dewam dike:

“Heke xelkê malê Ezraîl dîtibûna û peyvên wî bihîstibûna, wan mirî ji bîr dikir û ewê li ser xwe girîbûna!”

Rebbê me di her karê xwe de xwedî hikmet e. Naxwe bila em ti caran mirinê jibîr nekin, em her dem jê re hazir bin, lêbelê digel vê jî ji bo em ji lazimîyên heyata dinyayê li paş nemînin wextê ecel bi perdekeke sirrê ji me hatiye veşartin. Ev jî merhemeteke Xuda ye li ser bendeyên wî.

**Mesela;** heke zilamekî hê berê, wextê mirina xwe zanîbûya, wî ji ber kedera xwe, berî mirina xwe karê xwe û hêza xwe û heta

malbata xwe jî terk dikir. Heyatê; nîzam û ahenga xwe winda dikir. Heke însanan ew tiştên ku çêdibin, berê ew zanîbûna ku wê çêbibin, hingê îmkan nebû ew bextewar bibin, bi curecur cilwe û nazîyên heyatê dilxweş bibin û hizûr û aramîyê bibînin. Heke dêyek zanibe ew zarokê ku diwelidîne, wê di wextê ciwanîya xwe de wefat bike, yan jî wê di paşwextê de bibe mirovekî xirab, ewê heyata xwe di nav bê hizûrîyê de derbas bike.

**Welhasil** nezanîna însanî ji bo wextê mirina xwe lutfeke îlahî ye. Lewra Ellah Teala heyata dinyayê li ser esasê hikmeta îmtîhanê xelq kiriye û dîsa bi vê hikmetê “**qeder**” û “**ecel**” ê ku ew jî di nav wê de ye, mechûl kiriye. Bi vê sebeb zerûrî ye ku mirov her gav û demê ji mirinê re hazir be.

Di ayeta pîroz de hatiye gotin:

“**Her candar wê mirinê tam bike. Di dawîyê de jî hûnê her li me bêne vegerandin**.” [323] Gellek ayetên pîroz ên din jî wekî vê hene. Ev îqazên îlahî ne, di Qur’ana Pîroz de têne dubarekirin ji bo em di gera arzûyên nefsanî yên xwe de nexeniqin.

Bapîrên me, qebristan di nîvê bajaran û pêşîya mizgeftan de çêkirine ji bo em fanîtîyê jibîr nekin da ku bi vî awayî her kesê were di wir de bibûre, paşwexta xwe bibîne, dersa fanîtîyê wergire û halê xwe îslah bike.

Divê em jî wan mirinên ku di dirêjahîya jîyana xwe de dibînin û dibihîzin heqîqeteke wisan îdrak bikin ku bêşiwar emê jî rojekê her wê bijîn û em mecbûr in ku dersa îbreta pêwîst ji van bigrin. Sade di vê rewşê de emê karibin ji ğefletê xillas bibin û bi dilekî agahdar û tije aram ber bi Heq ve rêwîtîyê bikin.

323. Enkebût, 29/57.

**Mezinê** me **Pêğember** gotiye:

"*Wê (mirinê) ya ku wekî kêrê hemû zewqên dinyayî qut dike,, zehf di bîra xwe bînin!*" [324]

Di hedîseke şerîfa dîtira xwe de jî gotiye:

"*Nimêja xwe, wekî nimêja wî kesê ku xatiran (ji heyatê) dixwaze wisan nimêj bike!*" [325] Bi vê talîmata xwe, îşaretê bi alîyê vî îbadetî yê di xusûsa tefekkura mewtê de, kiriye.

Yanî îbadetê nimêjê, ji heyata dinyayê ya ku em wek demî lê ne, ber bi heyata esasî ya axretê ve rêwîtîyeke manewî ye. Di rojê de pênc wextan li Cenabê Heq erzkirina îtaet, teslîmîyet, wefadarî, sedaqet û ûbûdîyetê ye. Nimêj ji bo evdî dîsîpîlîneke rûhî ye, ji bo ew hê li dinyayê ku dinya jê re wekî cure welatê ğerîbîyê ye hisseya xwe ji wusleta îlahî wergire.

Ji vê hêla xwe ve nimêj, di navbera dinya û ûqbayê de rêwîtîya mîracê ye. Ew mûmînê ku nimêja xwe bi tadîla ruknan di nav xuşû û diqqetê de eda bike û dubare li meşğûlîyetên xwe vedigere, her wekî di piştî mirina xwe de dîsa li heyatê hatibe vegarandin wilo bi hessasîyeteke dilî dijî. Nimêjeke wiha, însanî ji mûnker û fehşa diparêze. Ew nimêja ku bi maneya rastîya wê tê edakirin, talîmeke mûdhişa tefekkura mewtê ye.

Ew mûmînê ku karibe wekî xatiran ji heyatê bixwaze wisan nimêjên xwe eda bike, ew her menzara ku dibîne wekî ku ji pencera axretê wê temaşe dike wilo dijî. Ewê ku ji bo kemaleke rûhî ya wiha xwedî bin, ma ewê hîç karibin di rêwîtîya heyatê de rêhevaltiyê bi Îblîs re bikin? Ma ewê hîç bikevin bin esareta arzûyên nefsanî? Ma ewê dilê xwe hîç bi dev îhtirasên dinyewî ve berdin?

324. Tirrmizî, Zuhd, 4.
325. Îbnûmace, Zuhd, 15.

Ji Hezretê **Îbrahîm bin Edhem** pirs kirine:

“-Çima dûayên ku em dikin nayên qebûlkirin?”

Hezret ji wan re got:

“-Heke hûn Heq nas bikin û fermanên wî jibîr bikin! Heke hûn Pêğember zanibin û hûn sunnetên wî neyênin cih! Heke hûn Qur’anê bixwînin lêbelê hûn pê amel nekin! Heke hûn Cennetê zanibin û hûn ji bo qezenckirina wê şiğûl nekin! Heke hûn Cehennemê zanibin û hûn hest bi fikaran nekin! Heke hûn bibêjin; mirin heye û hûn hazirîya wê nekin! Heke hûn kalên xwe û dêyên xwe û mirîyên xwe bi destên xwe bixin qebrê lêbelê hûn îbret ji wan negrin. Vêca dema wiha bibe, kesekî ku ev qeder di ğefletê de be, çawa dûayên wî dê mûstecab bibin!” [326]

Ha dema dersa îbretê bi awayekî layiqê wê neyê xwendin, bi awayekî pêwîst hazirbûna ji bo wê jî dibe mijara îhmalkarîyeke dehşetdar.

## MÛHÎMTIRÎN MECHÛL: NEFESA DAWÎ

Dostên Heq ku bi dilekî arif dijîn, temenê wan di nav kemala rûhî ya tefekkura mirinê û metirsîya mechûlîyeta nefesa dawîn de derbas dibe. Lewra ew baş dizanin; ew şeytanê ku di dirêjahîya emrê xwe de ğeyret dike ji bo lingê însanî bişemitîne, ewê di dema nefesa dawîna însên de bi hirseke hê bêhtir li ser îmana wî mûsellit bibe. Ewê mirovên ku di qelbê wan de şubhe hebe ji rê derxîne û ji kufrê re dûçar bike. Paşê ewê wî însanê ku ji rê biriye jî bi bedbextiya wî re bi tenê bihêle û biçe.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

326. Tezkîretû’l, Ewlîya, rûp. 40.

“**Şeytan ji însanî re dibêje: «Înkar bike.» Çi dema însan înkar dike jî jê re dibêje: «Ez ji te dûr im, lewra ez Ellah ê Xudayê alemê ditirsim.»**” [327]

Bi vê sebebê em ji Cenabê Heq nîyaz dikin, nexasim di nefesa dawîn de ku îxlasa me mûhafeze bike. Vîraja (fetloneka) dawîya rêbiwara ecel, ya di rêwîtîya heyatê de zehf tûj û tehlûkedar e. Ji lewma divê mesela me ya ji hemû meselan mûhîmtir, derdê me û metirsîya me; bi selametî li pey xwe hiştin û jê derbasbûna vê vîrajê be.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Gelî yên ku îman anîne! Li gorî ezameta Xuda bibin xwediyê teqwayekê. Sade wek misliman can bidin**.” [328]

Sehabîyê meşhûr, zahid û abid **Osman bin Mez‘ûn** li Medînê li mala jineke bi navê **Ummû’l-Ela** wefat kiribû. Vê jinê jê re gotibû:

“-Ey Osman, ez şehde didim ku vêga Ellah Teala îkramê li te dike.”

Resûlûllah derhal mûdaxele kir û jê re got:

“*-Tu ji ku dizanî ku Xuda îkraman lê dike?*”

Çi dema wê jinê jê re got:

“-Wellahî ez nizanim!” Resûlê Xuda wiha got:

“*-Binêre, Osman wefat kiriye. Ez bi şexsê xwe ji bo wî ji Xuda xêrê hêvî dikim. Digel ku ez pêğember im jî lêbelê ez nizanim ka wê çi (hal werin serê me) ji min û ji we were kirin*.”

327. Heşr, 59/16.
328. Alî Îmran, 3/102.

Ummû'l-Ela dibêje:

"Wellahî, di piştî vê hadîsê de êdî min di bara ti kesî de tiştek negot." [329]

Ji lewma mechûl e, mirov pê nizane ka kîjan însan li ser kîjan halî mirîye. Divê ewên ku li pey wî mane, di bara kesê mirî de xwe ji dana hukmê qet'î biparêzin. Lêbelê bila însan ji bo mirîyê xwe xêr-hesenatan bikin, bila jê re dûa bikin û bila jê re temennî û xwezîyên sipehî bikin.

Di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Însan li ser kîjan halî bijî li ser wî halî dimre. Ew li ser kîjan halî bimre li ser wî halî tê heşrkirin jî.*" [330]

Bi pirranî wiha ye. Lêbelê ji pêğemberan û ji mirovên ku pêğemberan mizgînîya xilaskirina îmanê dabe wan pê ve ji ti kesî din re di xusûsa xilaskirina îmanê ya di nefesa dawîn de temînat nîn e. Yanî divê însan, bi jîyîna tekûza xwe ya heta vêga û bi xêr û hesenatên xwe bawer nebe.. Divê ew zanibe ku tekane mercîîyê ku mirov pê bawer bibe û pişta xwe bispêrîyê Cenabê Heq e. Divê însan bi hal û amelên ku Cenabê Heq razî dikin, xwe bavêje ber penaha wî.

Divê em jibîr nekin ku wekî îbadet û amelên salih ên me îhtiyaca dûayên me jî bi qebûlbûnê heye. Lewra di nabara nefesa dawîn de ku mûhîmtirîn mechûla evdî ye, di hedîseke şerîfa din de wiha hatiye gotin:

"*Însanek zemanekî dirêj amelê ehlê cennetê dike, piştre bi amelê ehlê cehennemê digihîje dawîyê. Însanek jî zemanekî dirêj*

329. Buxarî, Tabîr, 27.
330. Mûnawî, Feyzû'l-Qedîr, V, 663.

*amelê ehlê cehennemê dike, piştre bi amelê ehlê cennetê digihîje xîtamê.*" [331]

Di bara dana sebebê leqeba "Bekka" (zehf digre) ji bo dostê Heq **Hezretê Elî Bekka** de wiha tê vegotin:

Hevalekî wî yê wekî wî salih û welî hebûye. Ew xwedîyê hal û kerametan bûye. Ew carekê pevre derketibûne rêwîtîyê. Ew cihê ku diçûnê bi rêveçûnê rêya salekê bûye. Wan bi kerametên xwe ev rê di saetekê de xilas kiribû. Vî hevalê wî wesîyet lê kiribû û jê re wiha gotibû: "Ezê di filan wextî de li filan welatî bimrim. Wî zemanî li dev min be." Lêbelê ew hevalê wî di wî zemanî de di nefesa dawîn de bê îman mir.

Hezretê Elî Bekka li hemberî vê bûyerê ew zehf girî û fikar pê re çêbûn ku dibe ew bi riza'ya Ellah Teala negihe û di nefesa sawîna xwe de jî îmana xwe xilas neke.

Ji lewma divê di xusûsa nefesa dawîn de dilê mûmînî, di nuqta hevkêşîya hesta tirs û hêvîyê de be. (Yanî divê dilê wî di navbera hisa tirs û hêvîyê û xewf û ricayê de îbadet û taetê eda bike û li xwe miqate be).

Dema însanan ji **Ehmed bin 'Asim Antakî** -rehmetûllahî eleyh- dixwest ku ew nesîhetan li wan bike, wî ji wan re wiha gotiye:

"*Tirsa zehf bi feyde ew tirs e ku însanî ji gunehan û ji karên ku Ellah Teala wan napejirîne, diparêze, ewa ku ji ber karên axretê ji destên wî derketine wî jî di ğeman de ğerq dike; di emrê wî yê mayî de jî wî di xusûsa halê wî yê di nefesa dawîn de jî diajoyê ser endîşe û fikaran*."

Hezretê **Mûhemmed Masûm Farûqî** jî wiha gotiye:

331. Mûslim, Qeder, 11.

"*Tirsa ji nefesa dawîn nîmetek e ku dostên Heq ketine vî derdê giran.*"

Peymaneke îlahî ji wan kesan re heye ku ewên li heyata dinyayê bi îlawe li ser wecda îmanê, hizûra îbadetê û exlaqê xweş, bi tirs û endîşeya nefesa dawîn dijîn, wê ji tirs û ğema roja qiyametê bêne parastin. Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Bêguman ewên ku dibêjin: Rebbê me Ellah e**, (yanî her sefha heyata xwe di nav mûhtewaya riza'ya Xuda de derbas dikin), **piştre di rêya rast û durust** (yanî di îstîqameta kîtab û sunneta seniyye de) **de birêve diçin, ferîşte li ser wan peya dibin.. Ji wan re dibêjin; «netirsin, ğemgîn nebin û bi wê cenneta ku peymana wê ji we re hatiye dayîn dilşad bibin**.»" [332]

## AQÎBETA/ENCAMA TE BIBE ÇI?..

**Şêx Ehmed Herb**, bi navê **Behram** cîranekî wî yê mecûsî hebû, yanî ew agirperest bû. Rojekê Hezretê Ehmed Harb ji Behram re got, îman bîne. Mecûsîyê yextiyar jê re got:

"-Ey Mezinê mislimanan! Ez sê tiştan ji te dipirsim. Heke tu karibî bersiv bidî, ezê îmanê bi dînê te bînim."

Çi dema Şêx Ehmed jê re got: "Bipirse", Behram jî jê pirs kir, jê re got:

"-Ellah ji bo çi ev xelk aferand? Û rizqê wî jî da, lêbelê çima wan dimirîne? Madem wan dimirîne, naxwe çima wan dîsa sağ dike?"

Şêx Ehmed, bersiva van pirsan wiha da:

332. Fussîlet, 41/30.

“-Xuda xelk aferand ji bo ew hebûna wî û yekbûna wî bizanin û di nav îdraka tecellîyên ezamet û qudreta wî de bibin. Wî rizqê wan daye ji bo rezzaqîya wî û merhemeta wî bizanin. Ew wan dimirîne ji bo ew qehharîya wî bizanin. Ew wan dîsa sağ dike ji bo baqîtîya wî bizanin. Welhasil ewê di hadîsat û wiqûata her sefha heyatê de îdrak bikin ku ew qadirê mûtleq e.”

Dema Behram ev bihîstin îman anî. Lêbelê di wê gavê de Şêx Ehmed Harb kete dehşetê û ji xwe çû. Dema ew bi xwe hat, jê pirs kirin, jê re gotin:

“-Ya Şêx, çi li te qewimî?” Wî got:

“-Di wê gavê de xîtab ji min re hat; Behram kafirek bû, heftê salan agir hebandibû, vêga misliman bû. Heftê sal e tu misliman î, ma tu dizanî ka di nefesa dawîna xwe de tu yê bibî çi?!” [333]

Ji lewma divê ğeyret bikin ku em her nefesa xwe di qiwameke wisan de derbas bikin ku gava dawîna heyata me ya dinyayê bixe ji xêrê îbaret. Bi îlawe li ser vê divê em ji bo xilasîya ebedî ya xwe tim û daîm xwe bavêjin ber rehm û meğfîreta Heq Teala.

Dema **Cuneydê Beğdadî** -quddîse sirûh- li çolên Yemenê digerîya, sekekî nêçîrê dîtibû. Meyzandibû ku wa ye diranên wî ketine, di wan pençên wî yên ku êrîş dibire ser şêran de ti qewet nemaye, ew reben bûye, halê wî bûye wekî halê rûvîyekî yextiyar. Di wextê xwe de wî xwe çen dikire gayên kovî û ğezalan û ew digirtin. Lêbelê vêga destpê kiriye ji mêşinên malê poçan dixwe.

Çi dema Cuneyd ew se wisan reben, westiyayî û bêhal dît, ji devê xwe bi xwe perçekek da wî. Û li hemberî vî seyî bi ğemgînî ev xeber gotine:

333. Tezkîretû’l-Ewlîya, rûp. 97.

"Hey se'wo! Ez nizanim ji me herduyan kî ji me wê baştir derkeve sibehê. Heke mirov li zahirê binêre ji ber ku ez îro însan im ez ji te baştir im. Lêbelê ez nizanim ka qeza û qeder wê çi bînin serê min! Heke lingê îmana min neşemite, ezê taca efûya Cenabê Heq bidim serê xwe. heke kisweyê marîfetê ji ser min bikeve, ezê ji te zehf nizmtir bibim. Lewra se çi qeder xuy xirab bibe bila bibe, wî nabin cehennemê."

Ha mûmînekî ku vê hissîyatê di dilê xwe de hildigre, ew heyata xwe ya dinyayê çawa ku di zevîyeka mayînan de birêve biçe aynî wisan bi hessasîyeteke mûstesna dijî. Ew ji bo qunağa dawîya ku li dinyayê bigihîyê bibe bexçekek ji bexçeyên cennetê, ji dil û can ji bo îrşada bêdenga qebristanan ram dibe. Ew di vê hikmetê digihe ku hazirîya ji bo mirinê ne xwe hazirkirina ji bo qebrê ye, lêbelê ji bo xwe hazirkirina qebrê ye.

Yek ji hezkirîyên wî di xewna xwe de Hezretê **Şahê Neqşîbend** dîtiye û jê pirs kiriye:

"-Ez çi amelî bikim ji bo bi xilasîyê bigihim?"

Hezret jê re gotiye:

"-Di nefesa dawîn de mijûlbûna bi çi lazim be, bi wê ve mijûl bibe."

Dema ecel were, lê bixe, destên bi meharettirîn jî êdî dibin ku (tiştekî) nagirin. Di piştî vê de ji bo însanî ne xwêhdan rijandin, ne westin, ne serma girtin, ne jî tenbelî-kirin heye. Yanî di rêya Xuda de hemû mazeretên beşerî yên ku li ber îbadet, xizmet û ğeyretê dibin asteng bi dawî dibin. Lêbelê êdî ne wextê îbadet û ğeyretê ye, zemanê çûna ber hesabê îlahî ye. Ji bo Xuda zemanê kirina amelê salih, heyata dinyayê ye. Heke ew firsend ji dest mirov biçe, dîsa bi şûn de vegerîna wî nîn e.

Hezretê **Cuneydê Beğdadî** dibêje:

"Rojeke dinyayê, ji saleke axretê bi xêrtir e. Lewra di rojeke dinyayê de ji bo tehsîlkirina (bidestxistina) riza'ya îlahî îmkan heye. Lêbelê li axretê, wekî dinyayê ji bo kirin û qezenckirina amelên salih îmkan nîn in. Lewra li wir sade hesabê emr heye."

Li gorî rîwayetan çi dema Hezretê Îlyas bi melaîketê mirinê re rûbirû hat piçekî jê saw digre. Vêca Ezraîl jê re dibêje:

*"-Ya Îlyas, tu pêğemberek î, ma tu ji mirinê tirsîyayî?"*

Hezretê Îlyas wiha bersiva wî dide:

*"-Ne xêr, min ji mirinê saw negirt. Ez ji bo xilasbûna jîyana xwe ğemgîn bûm. Lewra min jîyana xwe bi îbadetê, bi teblîğê ve dibûrand. Min lezzet ji evdînîyê distand. Lêbelê vêga ezê heta qiyametê di qebrê de gerew bimînim. Ji ber wê ez ğemgîn bûm."*

Şair, ka divê mûmîn heyateke çawa bijî çi xweş xulase dike, dibêje:

*Wê roja ku dêya min tu welidandî û avêtî dinyayê tu digirî;*

*li aliyekî jî hemû alem dikenî. Vêga emrekî wisan derbas bike ku dema tu bimrî, tu bikenî; bila cîhan li dûv te bi hêstirên çavan bike şireşir.*.

Ha ya mûhîm ev e; mirov karibe bi amelên salih û xêr û hesenatan li kûmbeta asîmanî dengekî xweş li pey xwe bihêle û deftera temenê xwe bigre. Seadeta ji hemû seadetan mezintir ew e ku mirov bi vî haletê rûhî, bi wijdaneke wiha mûsterîh, bi qelbekî selîm û bi rûyê sipî bigihîje dîwana Cenabê Heq.

Di tirkîya me ya ciwan de peyveke bi hikmeta wiha: "*Ewê ku di dawîyê de bikene, baş dikene*" heye. Maneya vê, dema di nefesa dawîna însên de perde ji berê tên hilanîn û cihê ku ewê biçiyê jê re tê şanîdan ew tebessuma ku hingê dike, ji wê tebessumê sipehîtir

nîn e. Li vê cîhanê sipehîtirîn, manedartirîn û mesûdtirîn tebessuma însanî ya di wê gavê de ye.

**Cenabê Heq bi lutf û kerema xwe me tevan bike ji wan kesan ku di nefesa dawîn de rûyên wan dikenin. Rebbê me, ji bo me bi nesîb û mûyesser bike ku em karibin bi van hikmet û îbretan nefsa xwe mûhasebe bikin, em ser û saman bi halê xwe bidin, em di nefesa dawîna xwe de wusleta ebedî biçêjin û em karibin bi hizûr û bextewarîya sibeha cejnekê, bi awayekî ji tirs û ğemgînîyê azade bigihîjin roja qiyametê!.**

**Amîn..**



# *Tercîhkirina Axretê Li Ser Dinyayê*

*Mûmîn, mecbûr e ku bedelê hemû nîmetên jê re hatibin îhsankirin nexasim şukrê "ÎMAN"ê ji Rebbê xwe re eda bike. Lewra rabûn û îddîakirina xwedîbûna xwe ji bo tiştekî ku bedela wî nehatibe dayîn, îştîğala bi ebesê ye.*

*Halê mirovên ku berpirsîya dana bedela nîmeta îmanê jibîr dikin û di zewqên demî yên dinyaya fanî de noq dibin, aynî dişibihe ketina masî ya di şewk de. Masî bi êmê ku dibîne tê xapandin, lêbelê wî çilakê veşartî yê di nav êm de nabîne. Ha ewên jibîr dikin ku heyata esasî jî heyata axretê ye, ew ji ketina xefk û faqên dinyayê xilas nabin.*

# TERCÎHKIRINA AXRETÊ LI SER DINYAYÊ

Her mûmîn, bi lazimîya îmana xwe li hemberî kesê ku qencî jê dîtibe hest bi minnetê dike, jê re teşekkur û dûa dike. Dema ew îmkan dibîne jî dixwaze bi awayekî sipehîtir hemberê wê qencîya wî ji stûyê xwe eda bike. Heta qedehek ava ku hatibe îkramkirin jî, ji hêla nezaketê ve teşekkura wê îcab dike.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Heke hûn rabin nîmetên Xuda bijimêrin, hûn nikarin wan bijimêrin**.." [334] Bêşiwar nîmeta ji hemû nîmetan mezintir, nîmeta "**îman**"ê ye. Mûmîn jî mecbûr e ku bedelê şukrê wê ji Rebbê xwe re eda bike. Lewra rabûn û îddîakirina xwedîbûna xwe ji bo tiştekî ku bedela wî nehatibe dayîn, îştîğala bi ebesê ye.

Îman; mezintirîn lutfa îlahî ye. Îmtîhan jî mîyarek e, dipîve ka em çi qeder qîmetê vê nîmetê dizanin û em çi qeder dişên xwedîtîyê lê bikin. Tişta ku ji mûmînan tê hêvîkirin ev e; ew di nav şertên guhêrber ên heyatê de bi sebr û teslîmîyet îmana xwe mûhafeze bikin. Ev di aynî zemanî de di mesaba bedelê naîlîyeta ji bo mûkafatên îlahî de ye. Çawa Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

334. Nehl, 16/18.

“**Ellah, ji mûmînan malên wan û canên wan kirrîye di hemberê wê de jî cennet daye wan**..” [335]

Ew zemanê ku mirov li dinyayê derbas dike, li hemberî bêdawîtîya axretê ne di mesaba zerreyekê yan jî dilopekê de ye. Lêbelê netîca îmtîhana dinyayê, yan cennet e ku ew mala seadeta ebedî ye, yan jî cehennem e ku ew jî warê jan û îzdîraba ebedî ye. Gelo wê îstîqameta rêwîtîya evdî bi kîjan alîyî ve be, di heyata fanîya wî de “**tercîhkirina wî ji bo axretê, yan jî ji bo dinyayê**” dê wê îstîqameta wî dîyar bikin.

Ji vê hêlê ve, li vê heyata kurta dinyayê di bara tercîhkirina axretê de xapîneke ji ğeflet şanîdanê mezintir ne mijara axaftinê nabe.

Dostên Xuda bi nûra nêzîkbûna ji Heq ji ğefletê şîyar bûne, ew bi çavê dil û nêrîna hikmetê her herfa kaînatê dixwînin. Ew bi yeqînî têdigihin ku kaînat ji bo ğayekeke ulwî bi hebûnê hatiye anîn, hîç tiştek pûç û abes nehatiye aferandin, her roja ku dibûre ji teqwîma emr pelekê jê dike û gaveke din bêhtir însanî ji qebrê nêzîk dike. Ew li ser pirsên wiha “gelo mane û hikmeta nîmeta heyatê çi ye? Dinya çima ji bo fermana însanî hatiye amadekirin? Em ji kuderê hatine vê cîhana wekî xaneke du-derî û rêwîtîya ji vê derê wê ber bi kuderê ve be?” tefekkur dikin, temenê xwe bi haletekî rûhî yê tenik, kûr û hessas dijîn.

## ELAMETÊ QELBÊ SELÎM

Mûhîmtirîn tişta ku roja qiyametê wê îhtiyaca me pê çêbibe, Rebbê me wê wiha eşkere dike, dibêje:

335. Tewbe, 9/111.

**"Ew roj ne mal û milk feyde didin (însên), ne jî zarûzêç. Lêbelê ewên ku bi qelbê selîm** (terteмîz) **werin hizûra Xuda** (ewê xilas bibin)." [336]

Ji bo mirov karibe bi **qelbê selîm** naîl bibe jî, berî dawetîye ji alema qebrê were, bi hazirîya ji bo rêwîtîya axretê ve bend e.. Ji bo vê gerek e mirov qelb, ji her tiştên ku însanî ji Xuda dûr dikin rafîne bike, yanî mirov wî safî û zirav bike û her nîmeta ku li dinyayê ji mirovî re hatibe bexşkirin ji bo selametî û seadeta uxrewî bike sermaye.

Dostên Heq du wesfên mûhîmtirînê **qelbê selîm** wiha îfade kirine, gotine:

1. *Divê mirov kesekî neêşîne û ji kesekî jî neêşe. Lewra qelb, nezargeha îlahî ye.*

2. *Dema karûbarên dinya û axretê werin hemberî hev, tercîhkirina karê axretê ye.*

Ew mûmînê ku ji hêla exlaqî ve bi qelbê selîm gihabe kemalê, hest û şiûra digel Xuda bûnê derdixe zirwê. Ew xwe tim û daîm li hizûra Heq di bin kamerayên îlahî de his dike. Ew her dem di nav tefekkura van ayetên pîroz de dibin:

وَهُوَ مَعَكُمْ أَيْنَ مَا كُنْتُمْ.

"**..Û hûn li kuderê dibin bibin, Ew** (Xuda) **her bi we re ye**." [337]

وَنَحْنُ أَقْرَبُ إِلَيْهِ مِنْ حَبْلِ الْوَرِيد

"**..Û em ji şahraya wî** (însanî) **jî ji wî nêzîktir in**." [338]

336. Şûera, 26/88-89.
337. Hedîd, 57/4.
338. Qaf, 50/16.

Dostên Heq jî ku di zirwa vî halê teqwayê de ne, wê rastîya heyata axretê ya ku Rebbê me dem bi dem wê di bîr tîne, tim û daîm bala wan li serê dibe û di rêwengîya jîyanê de îstîqameteke rast û durust dişopînin. Naxwe heke zirar li ser heyata axreta mirovî hebe, divê mirov dîrayeta destberdana ji hemû berjewendîyên dinyewî şanî bide.

## HEKE DINYAYAN JÎ BIDIN, EM WAN BI AMELÊ AXRETÊ NAGUHERÎNIN!..

Dema Hezretê Mûsa li seraya Firewn di nav xweş nîmetan de dijîya, wî xeber standibû ku Firewn dixwaze wî bikuje. Ew derhal wek bêzad û xwarin ber bi îstîqameta Medyenê ve derketibû ser rê. Ew tam heşt rojan birçî û tî birêve çûbû. Di rewşeke bê hal û westiyayî de gihabû pêşîya keleha Medyenê. Wî ew nas nedikirin ka kî ne û di xusûsa avdana mêşinên wan de arîkarîya keçên Şûeyb kir. Piştre wî di rewşeke westîyayî de xwe da ber siha darekê. Ew, ew qeder bêçare bû ku xwe avêt ber penaha Xudayê xwe û wiha digot:

**“..Rebbê min! Bi rastî ez, ji bo her xêra ku tu dê ji min re peya bikî mûhtac im!.”** [339]

Çi dema Hezretê Şûeyb xebera wê zatê ku di avdana mêşinên wan de arîkarîya wan kiriye, stand, ew ji bo mala xwe bang kir û xwarin jê re îkram kir. Hezretê Mûsa digel ku ew heşt roj bûn tiştek neçûbû mîda wî jî dîsa destê xwe bi ser xwarina ku li berê hatibû danîn dirêj nekir. Wî ji Hezretê Şûeyb re jî got:

*“-Em malbateke wisa ne ku temamê dinyayê bidin, em bi amelekî axretê naguherînin! Min ne ji bo vê xwarinê, lêbelê ji bo riza’ya Xuda arîkarîya we kir.”*

339. Qeses, 26/24.

Hezretê Şûeyb jî ji vê bersivê memnûn bû û jê re got:

*"-Ev îkrama me ne ji bo arîkarîya we ye, lê ji bo tu mêhvanê Heq î, ji te re hatiye teqdîmkirin." Vêca Hezretê Mûsa ew îkram qebûl kir.*

Ha ev mîsaleke abîdewî ye ku îmana bi axretê xwe di bizavan de jî daye xuyakirin. Heke însan zanibe ku li dinyayê ji birçîyan hemû taqet û hêza wî wê xilas bibe jî dîsa ew fîraseta neguherandina amelekî axretê bi ti hemberîyeke dinyewî, jidest nade.

**Wasîle bin Eska** mîsaleke dîgera vê gihana manewî jî wiha vedibêje:

Di wan rojên ku derdiketin sefera Tebûkê de (ji bo karibim di seferê de beşdarî bikim ne min hêzeke maddî hebû, ne jî merkebeke min hebû. Ji bo ez ji vê sefera mûbarek mehrûm nemînim) min li meydana Medînê wiha bang kire birayên xwe yên misliman:

"-Kî min li merkeba xwe bide siwarkirin ezê di hemberî wê de para xwe ji ğenîmê bidimê?"

Zatekî yextiyar ji Ensarîyan ji min re got; bi awayê siwarkirina bi dor li merkeba xwe ez karim te bibim herbê. Ez bi hevalê xwedî xêr re derketim ser rê. Xuda ğenîmet jî ji bo min kire nesîb; hinek hêştir li para min ketin. Min hêştir birin cem wî zatî. Wî jî ji min re got:

"-Raje hêştirên xwe û wan ji xwe re bibe."

Heke çi qeder min jê re got:

"-Li gorî peymana ku min di serî de bi te re kirî ev heqê te ne." Wî yê Ensarî ev bersiv da:

"-Birayê min! Raje ğenîma xwe, min ev para maddî ya te nexwestibû. (Ez bi hizra ku di sewaba te de yanî di qezenca uxrewî ya

te de pişkdar bibim û ji bo dilê xwe xistina riza'ya Heq min tu anîyî vê derê.)" [340]

Bi vî awayî wî Ensarîyê mûbarek jî karîbû bibe xwediyê gellek hêştiran ku di wê serdemê de ew malê ji hemû malan bi qîmettir dihatin jimartin. Lêbelê wî ew ecra ku wê li axretê jê re naîl bibe li ser wan hêştir û pertalan tercîh kir. Wî ji bo karibe xêreke ji bo Xuda bidest bixe, ew dîrayet şanî daye ku çi qeder ew bi qîmet be jî dîsa kariye dest ji menfîeteke dinyewî berde.

Çi dema ji dostekî Heq hate pirsîn; gelo tu bi hadîseyeke ku zehf tu di bin bandora xwe de hiştibe rûbirû hatî, yan na? Hezret ev vegotine:

"Min li Mekka mûkerrem kîsikê xwe yê peran winda kiribû û ez bi peran zehf hewce bûbûm. Min ji Besrayê çavnêrîya peran dikir, lêbelê ew jî di wextê xwe de nedihatin. Pora min û riha min jî zehf hatibû, dirêj bûbû. Ez çûm dev berberekî, min jê pirs kir, jê re got:

«-Perê min nîn in, tu dikarî ji bo riza'ya Xuda pora min rast bikî?»

Berber jî di wê esnayê de zilamek tiraş dikir. Derhal wî cihê vala yê li dev xwe ji min re şanî da, ji min re got; «li vir rûne.» mûşterîyê xwe li wir hişt û destpê kir ez tiraş kirim. Dema wî mûşterîyê ku li wir hatibû hiştin îtîraz kir, berber jê re got:

"Seydayê min, li qusûrê nenêrin, ez bi heqdest we tiraş dikim. Lêbelê vî kesî xwest ku ez ji bo riza'ya Xuda wî tiraş bikim. Karê ji bo Xuda tim û daîm li pêşîyê têne kirin û ti hemberîyeke maddî ya wan nîn e. Karekî ji bo Xuda, bende bedelê wî hîç nizane û nikare bide jî!"

340. Ebûdawud, Cîhad, 113/2676.

Berber di piştî tiraşê de bi zorê çend zêr jî xistin berîka min û ji min re got:

"- Tu karên xwe yên acîl pê pêşwazî bike, îmkanê min ev qeder in, li qusûrê nenêre!"

Çend roj di ser de bûrîn, ji Besrayê ew perên ku çavê min li benda wan bû ji min re hatin, min kîsikek zêr ji berber re bir. Berber ji min re got:

"-Ez hîç narajim wan! Hêza evdan nîn e û ew nikarin bedelê karê ji bo Xuda bidin. Kerem bikin bi rêya xwe ve herin, dewam bikin, Xuda selametîyê bide!"

Me li hev helal kir û ji cem wî çûm, lêbelê ev bû çil sal ku di seheran de her jê re dûa dikim."

Ha ev e fezîleta neguherandina amelekî salihê ku ji bo Xuda hatiye kirin bi dinyayan... Ev mûkemmelîyeta bizaveke wisa ye ku bi ti awayan têgihiştineke tenga ku ji bo xwe hîn bûye her tiştî di plana zahir de binirxîne û bi hirsa qezenckirina malê dinyayî sînorên helal û heramîyê jî nabîne, nikare wê fehm bike. Heta ji asoya dostanîya ji bo Heq neyê meyzandin besîreta heqîqî, fîraseta eslî û aqilmendîya rastî nayê fehmkirin...

## AQILMENDÊ RASTÎ KÎ YE?

Îcaba aqil û mentiqê ev e; mirov qezencên mezin ên ku feyda wan wê ebedî dewam bike bi menfîetên besît, biçûk û berwext neguherîne. Ellah Teala dibêje:

**“Heyata dinyayê, ji leystikek û keyfbûrandinê pê ve ne tiştekî dî ye. Mala axretê ji bo xwediyê teqwayê[341] bêşiwar hê çêtir e. Ma hê jî aqilê we jê nagire?”** [342]

Di hedîsa şerîf de xwediyê aqilê rastî wiha tê tarîfkirin:

“*Aqilmend ew kes e ku hefsarê nefsa xwe dixe destê xwe, wê dikişîne ber hesabê û ji bo piştî mirinê kar dike; ehmeq jî ew kes e ku xwe bi dest nefsa xwe ve berdaye û dîsa jî ji Xuda (xêrê) hêvî dike.*” [343]

Ha divê mirov di ronahîya van rastîyan de mîzan bike ka însanek çi qeder xwediyê aqilê selîm e. Îcaba aqilê selîm jî; tercîhkirina baqîyê li ser fanîyê ye.

Mezinê me Pêğember wiha gotiye:

“*Rewşa dinyayê li kêleka axretê, wekî vê ye ku yek ji we telîya xwe di nav behrê de noq bike û wê ji navê derxîne. Telîya wî ji behrê çi qeder (bi xwe re) derxîne, ha dinya li cem axretê dibe ew.*” [344]

Dema eshabê kîram di werçerxa Mekkê de di bin zext, zulm û ambargoya mûşrikan de bûn, ji xwe bi xwe re gotin:

“Em ji bo karibin ji Rebbê xwe re bibin bende xwe didin ber her êş û cefayê. Kafir jî li ber fermana Xuda radibin, lê ew li dinyayê di nav refah, keyf û zewqê de rehet rehet ji xwe re digerin û ew çawa dixwazin ji xwe re menfîetên dinyayî wisan bikartînin.” Vêca Rebbê me, ferman li mûmînan kir ku ew ûqbaya zehf ji dinyayê çêtir tercîh bikin:

---

341. Teqwa: Ew huner e ku mirov hefsarê arzûyên nefsanî yên xwe bixe destê xwe, îstîdadên xwe yên rûhanî bilind bike û karibe ji Heq re bibe kole û dost.
342. Enam, 6/32.
343. Tirmizî, Qiyamet, 225/2459.
344. Hakim, Mûstedrek, 4/319.

"**Bila ger û fera yên ku kafir bûne ya di welatan de, te nexapîne ha! Ew menfîeteke hindik e. Paşê vehewîngeha wan dojeh e. Çi pîse-hedangeh e, ew der! Lêbelê ji bo yên ku xwe ji hatina li hemberî Xudayê wan parastine, bihiştên wisa hene ku di bin wan de çem diherikin, ewê heta hetayê li wê bimînin. Ev** (ji wan re) **ji cem Xuda wek mêhvandariyekê ye. Ji Ebraran** (qencîkaran) **re nîmetên li cem Xuda, çêtir in.**" [345]

Ji lewma dema ji pencera axretê ve were meyzandin hemû rehetî û zewq û sefaya dinyayê ji menfîeteke hindik îbaret e. Heke qîmetekî dinyayê li cem Xuda hebûya, Cenabê Heq wê bendeyên xwe yên ku zehf ji wan hez dike, pêğemberên xwe heta qiyametê di qesr û serayan de di nav refeh û keyf û şahîyê de bidana jîyandin.. Lêbelê Ellah Teala rûyê heqîqî yê dinyaya fanî ji pêğemberên xwe û bendeyên salihên xwe re şanî daye û berê dilên wan ji dinyayê bêhtir daye ser ûqbaya ku ji wê zehf çêtir e.

Çawa **Resûlûllah** ferman dike, dibêje:

"*Ti têkilîya min bi dinyayê re nîn e. Rewşa min li dinyayê, her wekî rêwîyekî ye ku li binê darekê xwe daye ber sihê, piştre jî bi ser rêya xwe ve diçe.*"[346]

Terzê heyata eshabê kîram ku bi terbîya nebewî gihane û perwerde bûne di vê mijarê de ji bo me nimûneyeke bêhempa ye. Bêrîkirina wan ji bo mala axretê û îştiyaqa wan ji bo şehîdbûnê çîroka li ser zimana ye:

Arzûya dinyayê ji çavên sehabîyên gênc hatibû xîçkirin û mehebbeta Resûlê Xuda kirasê xwe heta li biçûktirîn şane û hucreya wan jî kiribû; wan radihişt nameyên Resûlê Xuda yên ku banga Îslamê dikirin, ew bi xwe re dibirin û di navbera celladên ku ji bo

345. Ali İmran, 3/196-198.
346. Tirmizî, Zuhd, 44.

firandin û birîna serîyan amade bûn de derbas dibûn û li pêşberî şah û kralan bi cesareta îmanê dixwendin.. Ew bi dil û canê xwe wisan bi Mezinê me ve sağlem bend bûn ku di demên wilo tehlûkedar yên ku serê wan de mirin hebû de jî dîsa digotin:

"Ya Resûlellah! Tu çawa dixwazî wilo hereket bike, ferman li me bike, em bi te re ne. Bi heqê wî Xuda yê ku tu şandî, heke tu xwe bavêjî behrê, emê jî bi te re xwe bavêjinê û hîç yek ji me jî wê ji me li paş nemîne!.." [347]

Di serdema xîlafeta xwe de **Hezretê Ûmer** li **Xebbab bin Eret** rast hatibû. Ew yek ji mislimanên pêşî bû û **Hezretê Ûmer** jê re gotibû:

"-Ji kerema xwe hinekî şkenceyên ku te di rêya Xuda de kişandine, vebêje?"

Vêca Hezretê xebbab jê re gotibû:

"-Ya Mezinê mûmînan, li pişta min binêre!"

Dema Hezretê Ûmer li pişta wî meyzand, di nav bizdihan û heyretan de ma û jê re got:

"-Min di emrê xwe de hîç pişta însanekî ku wiha xirab bûbe, nedîtibû."

Xebbab peyvên xwe wiha berdewam kirin:

"-Kafiran agir pêdixistin û ez bê cil û berg li ser pizotan gêr dikirim. Agir bi dohnên ku ji pişta min bi ser de helîyayî dimevirî." [348]

Ha di salên pêşîn ên Îslamê de mûşrikan mûmîn wiha dixistin şkencê. Lêbelê dîsa jî nikarîbin peyvên kufrê yên ku dixwestin

347. Îbnû Hîşam, II, 253-254.
348. Îbnû Esîr, Usdû'l-Ğabe, II, 115.

bi wan bidin gotin. Lewra heyecana îmanê, hemû jan û îzdîrabên dinyewî berteref dikirin.

Di hemberî arzû û endîşeya însanîyetê de ku îro ew ji dil û can dixwaze karibe li dinyayê piçekî rehettir û dirêjtir bijî, mezintirîn arzûya nifşa sehabîyan jî ev bû ku karibin bi rûsipîtî, bi hizûra wijdanî û bi qelbekî selîm întîqal bibin û herin axretê.

Rojekê **Îbnû Mesûd** ji tabîîn, ên dostên xwe re got:

“-Hûn ji sehabîyên Resûlûllah bêhtir rojî digrin, nimêj dikin û hewl didin amelên salih bikin. Lêbelê ew ji we çêtir bûn.”

Dema wan jê pirs kir, jê re got:

“-Ev çawa dibe?”

Wî ji wan re got:

“-Ew li hemberî dinyayê ji we bêhtir zahid bûn û ji bo axretê jî ji we bi reğbettir bûn.” [349]

Nifşa sehabîyan di nav wecda îmaneke mezin de xwe ji bo Xuda kiribûn nezr û weqf. Xwe ji Xuda re nezirkirineke wekî ya nifşa sehabîyan jî di tarîxa nêzîka me de Mehmetçikên sing tije-îman di sefheyên Herba Çanaqqaleyê de raxistibûn meydanê. Çawa wan berevanîya ji welêt deynekî mûqeddes zanî bûne, xwe ji edakirina wî deynî ya bi gîyanê xwe jî nedane paş, ew li dinyayê bûrîne û bi awayekî can sîperane herb dikirin; wek îcabeke îmana xwe dest avêtibûne çek û sîlahan.

Divê em jî aynî wekî nifşa sehabîyan û wekî bav û kalên xwe yên mûbarek, heke lazim bike em li dinyayê bibûrin û em rêveçûna di rêya binûra Pêğemberê xwe de ku em ummeta wî ne, ji her tiştî ezîztir zanibin.

349. Hakim, Mûstedrek, 4/135.

Resûlê Xuda bi wesîleyên mûxtelif û dem bi dem digot: "*Xudayê min! Heyata rastî, sade heyata axretê ye*." [350]

Em jî wek ummeta wî mecbûr in vê destûrê li ser dilên xwe nexş bikin. Dema em jî bigihîjin nîmetekî ji nîmetên fanî û berzewal, divê em bibêjin; "*Xudayê min! Heyata rastî, sade heyata axretê ye!*" Divê em şukrê xwediyê heqîqîyê nîmetê bikin; divê em xwe ji şemûsî, quretî, serxweveçûn, harîtî û ğefletê biparêzin. Lewra halê mirovên ku ji hessasîyeteke wiha mehrûm bin, Rebbê me wiha dide zanîn:

"..**Ew bi jiyana dinyayê ser xwe ve çûne. Haleveku jiyana dinyayê, li kêleka axretê ji feydekeke berwext pê ve ne tiştekî din e**. "[351]

Dîsa em wek mûmîn, dema li mûsîbetekê, yan jî li îbtîlayekê rast bên, di wextên ku zor li sebra me were kirin de divê em bibêjin; "*Xudayê min! Heyata rastî, sade heyata axretê ye!*" bi vî awayî em xwe bi riza, teslîmîyet, sebr û tewekkulê metaneta xwe û hevkêşîya gîyanî ya xwe biparêzin. Tim û daîm em xwe bavêjin ber penaha Rebbê xwe û di nav şiûr û îdraka vê ayetê:

"**.. Menfîeta dinyayê ne giring e, axret ji bo yên ku ji Xuda ditirsin hê bi xêrtir e..**" [352] de heyateke bi hizûra evdînîyê bijîn.

Heyata dinyayê tê zenkirin ku ewê hîç xilas nebe, wisan bi hovîtî û bêînsafane tê derbaskirin. Haleveku ayeta pîroz dide zanîn ka ew di eslê xwe de çi qeder beşeke kurta zemanî ye. Ayet dibêje:

"**Dema ew qiyametê dibînin, zen dikin ku ew sade bi qasî wextê şevekê yan jî danekî sibehê li dinyayê mane**." [353]

---

350. Buxarî, Rîqaq, 1.
351. Ra'd, 13/26.
352. Nîsa, 4/77.
353. Nazîat, 79/46.

Ji lewma di vî emrê kurt de karê ku aqilane were kirin, evdînîyeke baş ya ji Heq re ye. Lêbelê wekî ku hemû nîmet wilo ne, nîmeta heyatê jî heta ji dest mirov neçe bi awayekî layiq bihayê wê nayê fehmkirin. **Necîb Fazil** di bîr tîne ku; “tekane îmkana ku karibe mija vê ğefleta umûmî ji ser mefhûmê zemanî belav bike «tefekkura mirinê» ye.” Ev beyt û malika wî çi qeder manedar e:

*Zeman gomlekê yê dîn e; ya ku wî diqetîne jî mirin e;*

*Di mirinê de mideha yekpare, ne birrîn e, ne dabeşî ye.."*

Bav û kalên me yên ku li ser esasê vê heqîqetê dilê wan di keş û hewaya îman û îrfanê de hatiye stran, li nav qebristan darên serwê çandine. Qebristan fanîtîya dinyayê dibîr tînin û dara serwê jî ji ber ku pelên wê naweşin ebedîtîya axretê temsîl dike.

Di nuqta pêhisa axretê de ev şîreta **Luqmanê Hekîm** zehf giring e:

“*Kurê min! Di ber axretê de dinyayê feda bike, tu yê herduyan jî qezenc bikî. Lê zinhar di ber dinyayê de axretê feda neke, tu yê herduyan jî winda bikî.*”

Bi rastî dinya û axret dişibihin du ferên mêzînê. Dema giranî bi yekê ji wan were dayîn ya din sivik dibe. Dilê her mûmînê xwedî aqilê selîm, tim û daîm mecbûr e meyla xwe bide ser axretê. Lewra ewê ku ji bo sewdayên berwext ên dinyayê û hewesên wê ram bûbin û ewên ku pê bextewar bûbin, fikr û hezkirina axretê ji dilê wan derdikeve. Dema banga ji bo axretê di qelb de bicih bibe jî, hingê fikra banga ji bo dinyayê ji dil re ğerîb dibe.

## DERMANÊ QESWETA QELBÎ

Di roja me de di bingeha çendîn bêhizûrî, diltengî û îbtîlaya qesweta qelbî yên ku têne jîyan de, jibîrkirina axretê û ketina bi derdê dinyayê heye. Wisan bûye ku êdî çenfîn feqîr, bi hirsa zengînbûnê; çendîn zengîn jî bi hirsa hê bêhtir qezenckirinê di serî de ezîyetê didin rûhê xwe. Ewên ku nahizirin ka wan (serweta xwe) ji kuderê û çawa qezenc kirine û şetafeta mirovên ku xwe bi rewş û avzêrkirîyên berwext ên dinyayê xemilandine, hewes dikin, lêbelê ew jibîr dikin ku zengînîya bi seltenettirîn jî **qenaet** e.

**Mezinê me** ferman dike, dibêje:

"*Kî, arzûya wî axret be, Xuda zengînîya xwe dixe dilê wî û karên wî rast li rê dibe. Êdî dinya jê re stûxwehr dibe û li dûv wî tê. Kî jî hedefa wî dinya be, Xuda feqîrtîyê dixe navbera herdu çavên wî, karên wî jî bêserûber dike. Di netîcê de ji dinyayê jî, ji tiştê ku jê re hatibe teqdîrkirin bêhtir nakeve destê wî.*" [354]

Ha ev e receteya nebewî, ji bo vebûna singê, ferahîya qelbî û hizûrîya wijdanî..

Dîsa dema pirsa **"vebûna sing"** a di ayetê de ji Mezinê me Resûlê Ekrem hate pirsîn; ew çi ye? Ayet wiha ye:

"**Xuda, bixwaze kê bîne ser rêya rast, singa wî ji Îslamê re vedike**.." [355] Wî wiha bersiv da, got:

"-*Dema nûr bikeve qelb, sing tê vekirin û ji bo wê fereh dibe.*"

Dema wan jê re got: "-Ma elametekî vê heye?" Mezinê me ji wan re got:

354. Tirmizî, Qiyamet, 30/2465.
355. Enam, 6/125.

“*-Erê, heye. Ev e; mirov berê xwe ji dinyaya ku cihê xapînê ye, vegerîne (û îtîbarê bi arzûyên nefsanî yên wê yên berwext nede û bi amelên salih), berê xwe bide ser axreta ku heyata ebedî ye û mirov berî hatina wê jî hazirîyê ji mirinê re bike..*” [356]

Mezinê me Pêğember di hedîseke şerîfa din de jî gotiye:

“*Ew kesê ku dinyayê li ser axretê tercîh dike, Xuda Teala wî bi sê tiştan mûbtela dike: Diltengîyeke ku hîç ji dilê wî dernakeve, feqîrtîyeke ku ew hîç jê xilas nabe û hirseke ku ew hîç têr nabe.*” [357]

## QUSÛR NE DI DINYAYÊ DE YE, LÊ DI WÎ KESÎ DE YE KU PÊ TÊ XAPANDIN...

Ellah Teala, wan menfîetên dinyewî yên ku li xweşîya nefsê diçin di eslê xwe de her yek ji wan wek wesîleke îmtîhanê derdixe pêşberî me. Xapîna bi van menfîetan dişibihe wî masîyê ku dikeve şewkê masîyan. Masî bi êmê ku dibîne tê xapandin, lêbelê wî çilakê ku di nav êm de hatiye veşartin nabîne. Ha ewên ku vê xefk û faqê nabînin, ji xapîna bi wê xilas nabin.

Ji bo mirov karibe bi selametî ji îmtîhanên îlahî derbas bibe ku çendîn ling di wan de şemitîne û çendîn îrade di wan de hatine belavkirin, bi vê ve bend e; mirov karibe rûyê hundurîn yê menfîetên dinyewî bibîne û mirov karibe “**sirrê îmtîhanê**” yên di wan de his bike.. Ji bo mirov karibe vê fîrasetê bidest bixe jî şert e ku mirov li hemberî xefkên bicazîbe yên dinyewî yên wekî serwet, şehwet û şohretê şîyar be û di her halûkarî de karibe selametîya axretê tercîh bike.

Rebbê me di vê mijarê de me wiha şîyar dike, dibêje:

356. Îhya, IV, 406-7.
357. Îhya, IV 411.

“**Lêbelê hûn** (gelî mirovan!) **digel ku axret hê çêtir û hê mayendetir e jî dîsa hûn jîyana dinyayê tercîh dikin**.” [358]

“..**Hûn malê berwext ê dinyayê dixwazin, haleveku Xuda** (ji bo we) **axretê dixwaze**..” [359]

Zengînîya ku li dinyayê tê qezenckirin, bi zehfî heta bi qebrê bi xwediyê xwe re rêhevaltiyê dike. Di zahirê xwe de tişta ku însan karibe ji dinyayê (bi xwe re) bibe qebrê, bes ji kefenekî îbaret e. Di batinê xwe de însan, wê bi îmana xwe û amelê xwe re bikeve qebrê. Li ser vî esasî, divê mirov bi serweta bêwefaya dinyayê bawer nebe û bi zewqên berwext ên wê neyê xapîn.

Li gorî rîwayetan **Zulqerneyn** bi seferên ku kirine li ser temamê dinyayê hukmdar û zal bûbû, wî berî wefata xwe ev wesîyet kirine:

“*Min bişon û kefen li min bikin! Piştre min bixin tabûtekê! Bes bila milên min bi derve ve derketî bin! Bila xizmetkarên min jî li dûv min werin! Xezînên min jî li hêstiran bar bikin! Bila xelk bibîne, digel ku heta tu bibêjî bes selteneteke min ya bi îhtîşam û milkê min yê dinyayê hebûn jî dîsa ez destevala çûme, xizmetkarên min û xezînên min jî li vê dinyayê mane, ew bi min re nehatine! Bila ew bi vê dinyaya derewîn û fanî nexapin!..”*

Aliman ev wesîyet wiha îzah kirine:

“.. Dinya ji vî serî heta bi wî serî di bin îradeya min de bûye. Ez ji bo gellek xezînên bêjimar bûme xwedî. Lêbelê nîmetên dinyayê ne mayende ne. Ha va ye wekî hûn dîmenê dibînin ez destevala jê diçim! Malê dinyayê li dinyayê dimîne. Hûn li karê ku feyda wan ji bo axretê çêdibe, binêrin!..”

358. ‘Ela, 87/16-17.
359. Enfal, 8/67.

**Resûlê Xuda** jî ev nesîheta bi hikmet li me ummeta xwe kiriye, gotiye:

“..*Ez wesîyeta pênc xesletan li we dikim ku Xuda bi wan ji bo we xesletên xêrê bigihîne kemalê:*

*Tiştên ku hûn nexwin wan kom nekin;*

*Avahîyên ku hûnê di nav wan de nerûnin lê nekin.*

*Li ser tiştên ku hûnê sibê wan bihêlin û herin bi dîgeran re nekevin kişkişînê.*

*Ji wî Xudayê ku hûnê bigihinê û li hizûra bên komkirin, bitirsin.*

*Ji bo wî cihê ku hûnê bigihinê û ebedî lê bimînin, hazirîyê bikin*.” [360]

**Welhasil,** ewê ku di nefesa dawîn de (ji nû) fehm bike ku hatiye xapîn û ew sûc (ê xwe) bixe stûyê dinyayê bê feyde ye. Lewra heke însan bi dûv nîmetên dinyayê bikeve û nekeve heyata îman û fezîletê, ew bes xwelî li serê xwe dike. Naxwe di ber emel û hêvîyên ku hîç xilas nabin, sewdayên berwext û lezzetên fanî de berehewakirina paşwexteke bêdawî çi ğemnak e. Divê mirov fikr bike ku li dinyayê ne zeman û mekanek heye ku mirov ji ber mirinê pê ve bireve, ne di qebrê de îmkanek heye ku mirov dîsa bi şûn de vegere were, ne jî êwirgehek heye ku mirov ji ber dijwarîyên qiyametê xwe bixiyê û têde biparêze..

**Cenabê Heq, me tevan bike ji wan bendeyên xwe yên xwedî fîraset û besîret û ehlê teqwayê ku li hemberî tecellîyatên îmtîhanên dinyewî îxlasa we diparêzin! Bi lutf û kerema xwe ji me re îhsan bike ku çawa wekî wî dinya û ûqba bi wechê wan yê heqîqî ji evdên salih ên xwe re şanî dane, em jî karibin wan**

360. Elî el-Mûtteqî, Kenzû’l-Ummal, hd. Jimar: 1363.

**wilo bibînin û di her halûkarî de em karibin bi qelbê xwe berê xwe bidin ser axretê!.**

**Amîn..**

# Ferheng

**A-a**

**Aferînde**: Mexlûq, ewê ku hatiye xuliqandin.

**Aferîner**: Aferîndox, xaliq, pêkîner, çêker, peydaker, îcadker.

**Agah**: Zana, xeberdar, çav-vekirî, jîr, arif, dinyadîtî.

**Al**: Ehl, aîle, ewlad, nesl, kinês, zurrîyyet.

**Alemşimûl**: Cîhanşimûl, alem-tevî, ewa ku dinyayê tevî dide ber xwe.

**Amelî**: 1. Bi emel, kar û kirinan re elaqedar. 2. Ewê ku xwe li ber kar digre, tetbîqî, ne teorî, ne nezerî.

**Amil**: 1. Sebeb. 2. Kirde, ewê ku dike. 3. Faktor, hêman, 4. kartêker.

**Amîyane**: Bi awayekî layiqê xelkê ewam, dûr-edeb, bi hovîtî, normalî.

**Antropomorfîk**: Heyberên bilind û mûqeddes di şeklê însanî de hizrkirin.

**Apolet**: Ew hirî, hevrîşm, yan jî perçê sîmkirî ye ku li ser qismê milê unîformayên leşkerî têne pêvekirin û li gorî rewşa rutbeya wan guhertinê jî şanî dide.

**Aqîbet**: Encam, ekam, netîce, paşîk, serencam.

**Aqlî**: Ew tiştên eqlber, maqûl, bi eql re elaqedar.

**Ariz**: 1. Ewê ku tê. 2. Rûdana bi tesadufî. 3. Asteng, manîa.

**Asebîyet**: 1. Qehrînok, raperestî, mîzac esebî. 2. Xizmtî, nêzîkatîya xwedîtîyê.

**Ateîst**: Ewê ku Xuda înkar dike, bêdîn, kafir.

**B-b**

**Bahor**: Ew ba ye ku havînê bi awayekî birêkûpêk ji bejîyê ber bi behrê ve tê.

**Batil**: 1. Pûç, beyhûde, vala, derew, vir, çewt, şaş, neheq. 2. Ğeyrê heq. Bêhukm, ne derbasdar, Nerewa, nemeqbûl.

**Batin**: 1. Hinavî, navxwe. 2. Rûyê hinavî. 3. Veşartî, tişta nenêreber. Nexuya, nezahir. Navî, naverû, veşartî, nedîyar, nedîtber.

**Bêçare**: Naçar, heyirî, sergêj, jidestnehat. Neçar, lawaz, weza, bêhêz, bêmecal, ketî.

**Bed**: 1. Xirab, mekroh, berbat, bêkêr. 2. Xirabî, berbatî, bêkêrîtî.

**Bedbext**: 1. Bêşens, şens-nebaş. 2. Bêyom, bêqudoş. 3. bêdost, bêheval. 4. Felaketzede, belalêketî. 5. derdmend, ğemgîn. 6. Reben, neşadman, bêkeyf.

**Bedbîn**: Xirabbîn, reşbîn. Ewê ku her tiştî xirab dibîne. Hêvînemayî.

**Bedewî**: 1. Ew mirovê ku li çolê, di konan de bi mercên kevnare dijî. 2. Ne medenî, nedêmanî. 3. Neşehreza.

**Bedîa**: 1. Berhema hunerî. 2. Ew tişta ku bihayekî estetîk ê bilind ê wê heye.

**Bêgane**: 1. Bê elaqe. 2. Ne naskirî, biyanî, ecnebî. 3. Di Tesewwifê de ewê ku têkilîya xwe ji dinyayê qut kiriye.

**Begzade**: 1. Kurê beg. 2. Eslzade, şîrhelal. 3. Keszade. 4. Kurebav. 5. Lawên siltanên Osmanîyan.

**Beis**: 1.Zirar, zîyan, mehzûr. 2 Ğem.

**Bel hum edall**: Belkû ew ji heywanan jî rêşaştir in.

**Belağet**: Zanista rêz û rêçên Edebîyatê. Tekûzîya di peyv û nivîsê de. Îfadeya bi tesîr û bi huner. Di xeberdan û nivîsê de ya tekûz û îfadeya bi huner û bi bandor e.

**Bêperwa**: 1. Bêtirs, bêsaw. 2. Çavnetirs, bêqeyd.

**Berî**: 1. Rihabûyî, azade, salim. 2. Temîz, pak. 3. Bêqusûr, bêqebahet.

**Besîret**: 1. Dîtina bi dilî, dîtina rast û biendaz, jîrîtî, şûmbûn. 2. His, dîtina dûr, dûrebînî. 3. Firsend, fehmkirin, kûrbînî. Pêşebînî, dîtina bi qelb e. Dîtina bi qelbî, dîtina rast û bi endaz, dûrbîn, feraset, fehmkirin.

**Beşerî**: Tişta xasê însanî, bi însanî re elaqedar, jêder-însan.

**Beşerîyet**: Însanîyet, mirovatî, kurên însanî, lawên Adem.

**Bevken**: Tebessum, kenê bê dev vekirin e.

**Bextewarî**: Dilşadî, aramî, hizûra dil û wijdanî ye. Bextewarî, şadmanî, dilcoş, keyfxweşî û seadet e.

**Bextiyar**: Bextewar, kamiran, dilşad, dilxweş, keyfxweş, seadetmend. şadmanî, dilcoşî.

**Beyhûde**: Bêfeyde, bêmûfa, li ber çav nayê girtin, bêencam, bêmane.

**Bêzar**: Reht, gazindker, nerehet, nememnûn.

**Bilcumle**: Bi tevahî, bi giştî, bi temamî.

**Birr**: Teqwa, emelê salih, qencî-sipehîtî, xêr û hesenat.

**Buğz**: Hissa dijminahîyê, nefret, kîn, dijminahîya ji dil û hinavan.

**Buhtan**: Îsnada sûcê neheq, bêbextî, îftîra.

**Bûraq**: Ew merkeba ku Mezinê me Hezretê Mûhemmed di Mîracê de lê siwar bûbû û pê ji bo asîmanî hilgerîyabû.

**Burhan**: Delîl, pêbawerî.

## C-c

**Caliba diqqetê**: Balkêş, dêhnkêş,

**Carî**: 1. Ewê ku cereyan dike, diherike, herkber. 2. Derbasdar, mûteber, di rewacê de. 3. Ewa di tedawulê de ye.

**Carîye**: Jina kole, qerwaş, jina xizmetkar.

**Cazîbe**: Surdarî, cankêşî, dehfîner.

**Celadet**: Agîdî, qehremanî, lehengî, nebezî, mêrxasî, çavnetirs.

**Celb**: 1. Anîn, kişandin. 2. Banga nivîskî.

**Cemalî**: 1. Tişta ku li sifetên Xuda Teala yên cemalî vedigere. 2. Ewê ku bi mîzaca xwe xwediyê cemalê be, sipehî be, bedew be, lihevhatî be, lutfkar û dilovan be.

**Cezb**: 1. Coş û xuroşa rewanî. 2. Di Tesewwifê de; ew rewşa manewî ye ku Xuda Teala evdê xwe bi alîyê xwe ve dikişîne, ew wecd û keyfxweşî ye ku ji vê şîranîyê tê meydanê.

**Cîdal**: 1. Pevçûn, mûcadele. 2. Mûnaqeşe, axaftina agirîn.

**Cihûtî**: Yehûdîtî, Mûsewîtî.

**Curûf**: Ew zêdebûna ji tiştekî ye, posa'ya wî ye.

**Curum**: Ew sûcê ku cezayê lazim dike.

**Cuzî**: Hindik, piçek, kêm.

## D-d

**Dalalet**: Jirêderketin, rêşaşî, ji hîdayetê ketin, ji rêya rast ketin, rêya xwehr, serxweveçûn, meyla batilî, heqnenasî.

**Dawetname**: Dawetîye, bangname, gazîname, vexwendname.

**Deha**: 1. Qabilîyeta jîrî û têgihiştina awerte. 2. Xwedî zekaweta fewqelade.

**Dem**: 1. Zeman, wext, an, lehza. 2. Nefes, hilm. 3. Qurpandin, bi mêhtin vexwarin.

**Derfet**: Îmkan, wasîte, navgîn.

**Desttêwerdan**: Mûdaxele, destê xwe xistin navê, telîya xwe xistin navê.

**Dîgerkam**: Îsar, dîgerbîn; ewê ku dîgeran dihizire.

**Dîktator**: 1. Mûstebid, zordar, serdest, zulmkar. 2. Ew zilamê dewletê ye ku qanûnên mewcûd binpê dike, li derveyî bingehên urf û adetan dewletê li gorî keyfa xwe birêve dibe.

**Dipdîyar**: Tam eşkere, zehf zelal, pirr eşkere.

**Dîrayet**: 1. Zekawet, agahî, têgihiştin, tijefehmî. 2. Baladest-bûn, dest-bilindbûn, mûqtedirbûn.

**Dirhem**: Pîvana giranîyê, çarsedyeka okkayê (3, 25gram)

**Dîyalog**: 1. Li pêşber hev axaftin. 2. Berhema ku pala xwe dispêre axaftina li pêşberî hev. 3. Hatina terefan ya bal hev û li ser hinek mijarên dîyar axaftina wan e.

**Dûçar**: Mûbtela, bela-lêketî, pêvedayî, hatî-girtî, pêgirtî.

**Dumûr**: Kuhbûn,

## E-e

**Ebûs**: Rûtirş, rûqermiçî, bêmad, bêkeyf, nedestevîl.

**Ecr**: 1. Ew heqdesta ku wek hembera karekî, yan jî xizmetekê tê dayîn, ucret. 2. Mûkafata manewî ya ku di hembera sewab, sebr û tewekkulê de tê dayîn.

**Ecz**: Nekarîn, bêçaretî, bêqewetî.

**Eczîyet**: 1. Nekarîn. 2. Bêqabilîyetî, binketî. 3. bêçaretî, bêqewetî. 4. Tewazû, nefsbiçûkîtî, xizanî û belengazî.

**Edeb**: 1. Ew qaîde û usûlên ku divê li ber çavan werin girtin. 2. Ew xusûs û qaîdeyên terbîye û nezaketê yên ku divê mirov ji hêla exlaqî ve wan taqîb bike.

**Ehkam**: Geljimareya **hukm** e. Hukman, darazan. Yanî hukm û ferman.

**Ehwal**: Geljimareya **hal** e, rewş, wezîyet, dana Xuda, halên manewî.

**Ekol**: Rêgeh, xwendegeha fikrî, mekteb.

**Eksûlamel**: Reaksîyon, bertek, berepê.

**Elametê farîqe**: 1. Wesfê cudaker. 2. Taybetmendîya karakterîstîk.

**Elelade**: Wekî adetê.

**Elenî**: Eşkere, ne nihanî, ne veşartî.

**Eleyhillane**: Ev hevoka ha bi maneya "lanet li ser wî be!" tê, dema behsa şeytan tê kirin, ev hevok tê bikaranîn.

**Eleyhisselam**: Silav lê bin. Dema navê pêğemberekî tê gotin, bi meqseda rêz û hurmet girtinê ev hevok tê bikaranîn.

**Elzem**: Lazimtir, pêwîsttir, gerektir, bivê-nevê, jêneger.

**Emare**: Şop, nîşan, eser, elamet, berate.

**Emrê Heq**: Fermana Heq, emrê Xuda, mirin.

**Emsal**: 1. Wekhevan, hemtayan, hevsalîyan, hevtemenan. 2. Hevkêş, mûadil. 3. Nimûne, mînak, wekok.

**Enanîyet**: Ezîtî, ezperestî, egoîstî, xwedbînî.

**Enfûsî**: Tişta ku di nefsê de çêdibe. 2. Tişta ku hatiye hizrkirin, tişta ku xasê zêhnê ferdî ye, subjektîf.

**Entuvîzyon**: His, seh, pêhisî.

**Erkan**: Geljimareya **rukn** e. 1. Ruknan, sitûnan. 2. Esas, bingeh. 3. Giregir, girgirek, mezinên dewletê, yan jî dezgehekê.

**Esef**: Berketin, dilkulî, kovanî, ğemgîn bûn.

**Esma**: Geljimareya **îsm** e, bi maneya navan e.

**Esrê seadetê**: Ew serdema ku pêğemberê me Hezretê Mûhemmed wek pêğember li dinyayê bûye.

**Estetîk**: Lihevhatî. 1. Bi hesta sipehîtîyê re elaqedar. 2. Bedew, xweşik, tişta ku hesta ciwanîyê dide şîyarkirin.

**Eşrefê mexlûqat**: Însan ji hemû mexlûqatan bi şereftir e.

**Etfa nezer**: Çav lê kirin, nêrîn, meyzandin.

**Ewdet**: Hatina bi şûn de, vegerîn, zîvirîn, fetilîn.

**Eza**: Ezîyet, êşandin, tengasî-dayîn, cefa, zulm, jan-pêdan.

**Ezamî**: Bilindtirîn, pirrtirîn, jortirîn, mezintirîn, gewretirîn.

### F-f

**Fanî**: 1. Mirinber, demî, berwext, xilasber, dawîber. 2. Pirr yextiyar, zehf biemr.

**Fariq**: Cudaker, veqetîner, cihêkar.

**Fehşa**: 1. Ew peyv û karê ku aql û mentiq nikare qebûl bike. 2. Ew halên şehwanî yên ne rewa, fihûş, zina.

**Feqr û Zerûret**: Rewşa bûna di nav xizanî û bêçaretîyê de ye,

**Fer'î**: 1. Ya ne eslî, qismî, di dereca duduyan de. 2. Tefsîlat, kitekiteyî. 3. Ta, şağ.

**Ferağet**: 1. Bi vîyana xwe li heqê xwe bûrîn, terka heqê xwe kirin. 2. Li doza xwe bûrîn. 3. Efûkirin.

**Feraset**: Jîrîtîya zêhnî, qabilîyeta zû fehmkirina tiştekî, ji rûyê wî fehmkirina amadekarî û exlaqê kesekî, hesta çêbûna tiştekî berî hatina wî ye.

**Fesad**: 1. Xirab-bûnî, rizîn, gendelî, karê nelirê. 2. Tevlîhevî, gelacî, nîfaq. 3. Ewê ku tevlîhevî û berdîberdanê derdixe, nîfaqê dike, navbera mirovan xirab dike.

**Fesahet**: Fehmber, meramzelal, daxwazsade. Ew xeberdana ku ji hêla gotin, mane, aheng û rêzkirinê ve bêqusûr e. Bikaranîna zimanî bi awayekî rast, eşkere û rewan, herkbar.

**Fexrê Kaînatê**: Şehnazîya cîhanê, îftîxara kaînatê, bînahîya çavan Hezretê Resûlê Ekrem, serkehnîya şehnazîya hebûnê, Hezretê Pêğember.

**Feyyaz**: Raweya mûbaleğa feyzê ye. Maneya wê; zehf bi feyz, gellek berhemdar.

**Feyz sitandin**: Îstîfadekirina ji hêla manewî ve.

**Feyz**: 1. Şîranîya manewî; aramîya dil. 2. Destferehî, bereket. 3. Gihan, kemal û pêşveçûn. 4. Serveçûna avê û rijîna wê ye.

**Fîlozof**: Felsefeçî, feylesof, ewê ku bi felsefê re mijûl dibe. Ew fenzanê ku bi îlmê hikmetê ve meşğûl dibe.

**Fîraset**: Qabilîyeta têgihiştin, fehmkirin û sehkirina maneyê ye.

**Fişar**: Zext, serkutî, xurtî.

**Fitne**: 1. Îmtîhan, ceribandin. 2. Eyarkirin, har-kirin, aql ji serî birin. 3. Tevlîhevî, teşqele. 4. Navber xirab-kirin, fesadî.

**Fitrî**: Aferandinî, xulqîyetî, tebîî, ji zikmakî.

## G-g

**Gem lê xistin**: Asteng-bûn, nehiştina serxweveçûnê ye.

**Geşbîn**: Bi umîd-bûn, bi hêvî-bûn, ji bo paşerojê bi hêvî-bûn, geş dîtin, îyîmserlîk.

**Giriftar**: 1. Girtî, desteserkirî, êsîr, dîl. 2. Mûbtela, girtî, ketî.

**Giring**: Mûhîm, ehemmîyet, perepêdan.

**Global**: Cîhanî, alemî, gerdûnî, dinyayî, bi dinyayê re elaqedar, ya hemû dinyayê.

**Gotar**: Meqale, nivîsa ku di kovar û rojnameyan de tê weşandin.

**Gurûh**:1. Qerebaliğ, civak, cemaet. 2. Beşek. 3. Qerebaliğa pûç, civaka nehezkirî, kerî.

## Ğ-ğ

**Ğeflet:** 1. Rewşa ğafilbûnê ye. Bêxeberî, hay ji xwe neman. 2. Bi arzûya nefsa xwe kirin, zemanê xwe bi tiştê pûç ve derbaskirin. 3. Bi tiştê ne mûhîm ve mijûl bûn.

**Ğeraîb**: Geljimareya **ğerîb** e. Bîyanî, nenas, nejime, nejimalê, nedost, ne yar.

**Ğeyrê îxtiyarî**: Bê vîyana xwe, bê hemdî xwe, bê haya wî jê hebe, ne di dest xwe de.

**Ğeyya:** Rêşaşî, harbûnî, serxweveçûn. 1. Ew bîra di Cehennemê de ye. 2. Ew cihê ku derketina jê zehmet e.

**Ğezeba şahane**: Hêrsa padîşahî, acizbûna wî, qeherîna wî.

**Ğibte**: Nîmeta ku li bal yekî din heyî, xwestina wê ji xwe re. Ew berevajîyê hesedê ye.

## H-h

**Hadîsat:** Geljimareya **hadîset** e, yanî hadîseyan, bûyeran, rûdanan, qewimînan, weqaetan.

**Haiz**: Malik, sahib, xwedî, hilgir.

**Haletê rûhî:** Rewşa gîyanî, halê rûhî, rewşa psîkolojîka însên.

**Halûkar**: Rewş, hal, wezîyet, kar û îş.

**Handîkap**: Zorî, asteng, rewşa ne bi dest ve hatî.

**Haris**: Hirsdar, çikûs, temakar, diltêde, dilpêve, ji îhtiyacê bêhtir xwestin.

**Hasîlat**: Berhema ku hatiye meydanê, tişta bidestketî, kar, dahat, qezenc.

**Heddê layiq**: Bi qasî pêwîst, di tixûbê xwe de, di sînorê xwe de, nekêm-nezêde, pîvana di biryarê de.

**Heds**: his, hest, entuvîzyon.

**Helwest**: Tewr, mewqif, sekin.

**Hemaqet**: Ğelaya fehmkirinê, fehmkorî, tênegihayî, berneketî, nefehm.

**Heml kirin**: Îsnad kirin, lê-anîn, lê barkirin, sebeb şanîdan, westandin, xistin stû.

**Hengame**: 1. Dewr, zeman, çağ. 2. Komele, cemîyet, sazûman. 3. Pevçûn, qerebaliğ, xirecir. 4. Şerr, herb, ceng, pevketin.

**Heqnas**: Ewê ku heq û heqîqetê nas dike û wê qebûl dike. Ewê ku li pey tişta rast diçe.

**Hesenat**: Geljimareya **hesenet** e, yanî qencîyan, rewşên çak, karên xêrê.

**Heşr bûn**: Hatin komkirin, hatin cem hev, hatin berhevkirin.

**Heşr-neşr bûn**. Di nav mûnasebet û têkilîyên zehf nêzîk de bûn, li cem hev bûn û bi hev û din ve kelîn.

**Hevderd**: Hevalderd, hevğem, hevkul, heval-kovan, şirîkê derdan.

**Hewa**: 1. Ew arzû, hewes û pê xweşbûna ku bi tiştên nefsê re elaqedar e. 2. Zewqên nefsanî û dil-pêve-mayî.

**Hewale**: Hiştina karekî, kirinekê, tiştekî ji bo mirovekî din, jê re terk-kirin, jê re dewrkirin.

**Heya:** Şerm, hesta tengavbûnê, reva ji guneh û bizavên der-exlaqî bi sebeb tirs û hezkirina Xuda.

**Heysîyet**: Qîmet, biha, şeref, rûmet, îtîbar, navûdeng.

**Hezarat**: Geljimareya **hezret** e. Yanî Hazir, îhtîram, sîyanet, rêzdarî ye. Ev peyv di axaftinê de di pêşîya navan de ji bo hurmetê tê bikaranîn. Ji bo mêran Hezretê, ji bo jinan jî Hezreta. Kurtenivîsa wê jî **Hz**. e.

**Hicran:** 1. Cudabûn. 2. Êşa cihêbûnê. 3. Ğema dijwar. Kedera mezin. 4. Ğeyda yarê, terk-kirina yarê ye.

**Hikemî**: Peyv û ramana bi hikmetê re elaqedar.

**Hilm**: 1. Nermahîya di tebîetê însanî de. 2. Rûnermî, bêhnferehî.

**Himmet**: Îhsan, arîkarîya manewî, îtîmada rûhanî.

**Hovane**: 1. Hişk û bê usûl. 2. Dijwar, tundrew, mûamelenezan, bênezaket. 3. Xuynexweş, bêteb‘î.

**Huner**: Sen‘at. Pîşe. Marîfet. Zanatî. Hostatî, meharet. Pêhlewanî.

**Hurmetkar**: Ewê ku rêzê ji yekî re digre. Ewê ku dizane xatirê yekî bigre. Hurmetê jê re digre. Bimarîfet, xatirnas.

**Husna qebûl**: Di awayekî baş de qebûl dîtin, bi awayekî baş û sipehî rû şanîdan.

**Husna xatime:** Dawîya sipehî, aqîbeta li ser xêrê, li ser îmanê can dan.

**Husna Zenê:** Geşbînîya di bara tiştekî yan jî kesekî de ye. Zena sipehî, gumana başîyê.

## Î-î

**Îcab:** Lazim, divê, gerek, pêwîst.

**Îcra:** 1. Çêkirin, bicihanîn, birêvebirin. 2. Kişandin, herikandin û dan herikandin.

**Îctîhad**: Ew destûr û hukm e ku di fiqhê de xwedî peyv û alimên mezin ji Qur’an û sunnetê fehm dikin, ji wan derdixin û tînin li ber xelkê datînin.

**Îctîmaî:** Civakî, komelayîtî, sosyal, bi civakê re elaqedar.

**Îdlal**: Xistina dalaletê, ji rêya rast derxistin, har kirin, çewt kirin, fehş kirin.

**Îfrat:** Zêdegavî, serxweveçûn, sînorê xwe derbaskirin, ji tixûbê xwe bûrîn.

**Îfşa**: Eşkerekirina karên nihanî, îlankirina tiştên veşartî.

**Îftîxar:** Şehnazî, pesnê xwe dan, şan û şeref.

**Îhate**: 1. Dorgirtina li tiştekî, dor lê pêçan. 2. Fehmkirina bi zêhn, eql û zanînê; bi awayekî mûkemmel fehmkirin.

**Îhsan:** 1. Qencîya bi rastî û durustî. 2. Karê tekûz, mûkemmel û bêkêmasî. Ajar, nîmet, xweşî, kerem.

**Îhtîram**: 1. Hurmet, rêz. 2. Rêz û hurmet şanîdan.

**Îhtîras**: Çikûsîya zêde, arzûya zehf pêgirî, meyla zehf zêde li ser tiştekî.

**Îhya:** 1. Ji nû ve heyat dan qezenckirin, hişyarkirin, vejandin, sağkirin. 2. Bi îbadetê derbaskirina wextekî ye.

**Îkmal kirin**: Bi kemalê gihandin, temamkirin, xilas kirin, tekûzkirin.

**Îkon**: Di dêra Ortodoksî de teswîra olî, ayînî ye.

**Îktîfa**: Kafî-dîtin, têrêkirin, qenaet pê kirin.

**Îlhad**: 1. Ji bawerîya rast ketin, ji îmanê zîvirîn. 2. Xirabîya bawerîyê, bêdînî.

**Îllet**: 1. Nexweşî, nesağî, xestetî. 2. Sebeb, sedem.

**Îlletdar**: Nexweş, nesağ, elemdar, bi merez.

**Îltîca**: 1. Penah xwestin, êwirîn. 2. Pêbawerbûn, xwe pê sipartin. 3. Dûa û lavlavkirin.

**Îma**: 1. Vegotina sergirtî. 2. Vegotina bi îşaretkî. 3. Ew peyv, kelîme û îşareta ku tiştekî di zêhn de zindî dike. 4. Di ber de avêtin. 5. Rasterast negotin.

**Îmaret**: 1. Berhemên mîmarî, avasazî. 2. Sazîya ku bi meqseda arîkarîya hewcedaran hatiye avakirin. 3. Cihê ku têde xwarin ji feqîr, xwendekar û rêwîyan re tê dayîn.

**Împerator**: Şahê mezin, hukmdarê mezin, padîşahê ku dikare hukmê xwe li ser çend welatan bide derbaskirin.

**Înayet**: 1. Diqqet, ğeyret, çavlêkirin. 2. Lutf, îhsan, qencî. 3. Arîkarî, lutf, meded-kirin, îhsan, giringî-pêdan.

**Încîzab**: Cezib-bûn, hatin kişandin.

**Înfaq:** Ji bo mirovekî nefedan û debara wî kirin. Xerckirin, mesrefkirin, mal li yekî-xerckirin.

**Înkîşaf**: 1. Vebûn. 2. Mezinbûn, pêşveçûn. 3. Derketina meydanê. 4. Xuyabûna sirrekî, yan jî halekî manewî.

**Îns û cin**: Însanan û cinan.

**Însîyatîf**: 1. Pêşdestî, pêşdestxerî. 2. Hêza kirina tiştekî berî dîgeran, teqeddum. 3. Di mijara birêvebirina qerarê de wesfê ku di însên de heye.

**Înşîrah**: 1. Vebûn. 2. Singferehî, vebûnî.

**Întîqal**: 1. Ji deverekê çûna devereke din, cih guherandin. 2. Wek mîras mayîn. 3. Derbas bûn, sîrayetkirin.

**Întîsab**: 1. Mensûb-bûn, hatin girêdan. 2. Çûna karekî, çûna bi rêyekê ve.

**Înzal**: Peyabûn, anîna xwarê, nazil bûn.

**Îrad kirin**: Gotin, axaftin, peyvdan.

**Îrrasyonel**: 1. Ne maqûl, ne eqlber. 2. Ew dîtina ku di dereca yekê de malûmat wergirtin ne ji eql be.

**Îrşad**: 1. Rêya Heq, rêya rast nîşandan, îqazkirin. 2. Di tesewwifê de ew e ku mûrşid rêya Xuda şanî mirîdên xwe bide.

Şanî-dana rêya heq, rêya rast û durust, şiyar-kirin.

**Îrtîhal**: Ji dinyayê mala xwe barkirina ji bo axretê, wefatkirin, mirin.

**Îrtîkab**: Kirina tiştekî ku xirabî, berbatî, gunehî teşkîl dike.

**Îsar**: 1. Îkram. 2. Digel ku ew bi xwe mûhtac be jî dîsa ji nefsa xwe ferağet kirin û îhtiyaca yekî din li pêşîya îhtiyaca xwe girtin.

**Îskan**: 1. Bi cih kirin, însan bi cih kirin. 2. Bi war kirin, bi welat kirin, bi mal û xanî kirin.

**Îstîab**: 1. Di nav xwe de girtin, xistina nava xwe. 2. Girtin, kiraskirin.

**Îstîdad**: 1. Amadehî, hazirî. 2. Ew qabilîyet û meyla tebîî ji bo qebûlkirina tiştekî. 3. Aqilmendîtî. 4. Têgihiştîtî.

**Îstifham**: 1. Pirsa ku zêhn mijûl dike. 2. Bi awayê pirs pirsînê fehm kirin.

**Îstiğna**: 1. Qenaetkirina bi tiştekî hindik, çavtêrî. 2. Bê îhtiyacîtî.

**Îstiğraq**: 1. Noq-bûn, di navê de hatin veşartin. 2. Ji xwe çûn û dinya jibîrkirin. 3. Xeniqîn û noqav bûn.

**Îstihqar**: Nehêja-dîtin, biçûk-dîtin, heqîr-dîtin.

**Îstihza**: Tinaz lê kirin, pê kenîn, yarî-pê kirin, pê henek kirin, henekorîya zirav.

**Îstînad**: 1. Xwe li ber girtin. 2. Pê bawer bûn. 3. Palpişt, delîl.

**Îstiqbal**: 1. Dahatû, zemanê were, paşwext. 2. Pêşwazî-kirin.

**Îstîşare**: Serî lê dana li fikra heyet yan jî kesekî; pê şêwirîn,

**Îstixdam**: Girtina mirovekî ji bo kar-kirinê, di karekî dan xebatê, dan şiğulandin, dan emilandin.

**Îstixfaf**: Sivik dîtin, nehêja dîtin, biçûkdîtin, giringî-pênedan.

**Îştîğal**: Mijûl bûn, kar kirin, hewldan.

**Îştîğala bi ebesê**: Mijûlbûna bi tiştên ne hewce, kelevajî û pûç re.

**Îştîrak**: 1. Pişkdar bûn, şirîkatî-kirin. 2. Beşdar bûn, tevlî bûn. 3. Yekîtî, bi yek-bûn.

**Îştîyaq**: Zehf arzû-kirin, bêrî kirin, bi kelecan dîtin xwestin.

**Îtab**: Azar-kirin, erz-şikandin, pê de ğeyidîn, şermezar-kirin, “ne aferîn ji te re” destê te ne xweş” jê re gotin.

**Îtham**: Xistin bin tohmetê, sûc xistin stû, gunehkar dîtin, sûc jê re îsnad kirin.

**Îtîbarî**: Digel ku di rastî û fiîlîyatê de ne wilo ye jî lêbelê dîsa tê jimartin her wekî ku wilo ye.

**Îtîdal**: 1. Di kirin û dozekê de zêde neçûn, di nîvî de bûn. 2. Nermahî, mûlayîmtî. 3. Wekhev bûn, hevkêş bûn.

**Îtîkaf**: Di deh rojên dawîya Remezanê de têkilîya xwe ji karûbarên dinyayî birrîn, ketin mizgeftê û bi îbadetê ve mijûl bûn.

**Îtîqad**: 1. Pêbendbûna bi fikrekê, bi bawerîyekê, îman pê anîn. 2. Bihayên bawerîya esasî. 3. Pêbendbûna qelbî ya bi Xuda, bawerîyeke qet'î.

**Îxlas**: 1. Qelbê xwe safî kirin. 2. Hezkirina Ji dil, semîmî û bêrîyakarî. 3. Durustî û pêbendbûna ku ji hezkirina semîmî tê meydanê. 4. Sirf ji ber ku Xuda ferman kiriye îbadet kirin. 5. Di îbadet û karê ku dike de hîç ti hember û menfîetekê nexistin meqsed û ğaya esasî; lêbelê riza'ya Xuda tenê ji xwe re xistin meqsed û ğaya esasî. 6 Qencîyên xwe ji bo şanîdana ji mirovan re û ji rîyakarî û zerqekjarîyê dûr bûn.

**Îxtar**: 1. Dibîrxistin. 2. Balkişandin, dêhn kişandin. 3. Tenbih kirin, şîyar kirin. 4. Îlhama ku tê qelb. 5. Pêşagahî.

**Îz'an**: 1. Têgihiştin, fehmkirin, eql. 2. Îtaet, guhdarî-kirina li xeberdanê, stûxwehr-kirin. 3. Terbîye, edeb. Lê guhdarî-kirin, teslîm-bûn, terbîye, edeb.

**Îzafî**: Ewa ku dikare bi pêbendbûnja bi tiştekî ve biguhere, guhêrber.

**Îzah**: Bi eşkerehî li holê danîn. Bi kitekiteyî û tefsîlat daxuyandin, beyan kirin.

**Îzhar**: Da eşkerekirin, şanî dan, da derve, dîyar kirin.

## K-k

**Kafî**: 1. Ew tiştê ku kîfayet dike, têrê dike, îhtiyacê pêşwazî dike. 2. Têrker, digihîyê.

**Kapîtalîst**: Sermayedar, maldar, serwetmend.

**Kefaret**: 1. Paqij bûn. 2. Sedeqe dan, yan jî rojî girtin ji bo dan efûkirina wî gunehî ye ku di encama mecbûrîyetê de hatiye kirin.

**Kemal**: Gihan, têrê-kirin, temamîtî, tamîtî, bêqusûrî, nekêmî.

**Kemala edebê**: 1. Bi îtînayeke mezin, bi titîzî û diqqet şermkirin, heya-kirin. 2. Nezaket û zerafet şanîdan.

**Kemmîyet**: Çendanî, hijmar, miqdar.

**Kerem**: 1. Şeref. 2. Esalet. 3. Comerdî, lutf, îhsan. 4. Ew arîkarî-perwerî, xêrxwazî û karên sipehî yên ku ji van wesfan têne meydanê.

**Kes xwe nagihîne gwîzeka wî**: Ew qeder bilind e ku kes xwe nagihîne gwîzeka wî. Ew qeder qenc e ku kes nikare xwe bigihîne dereca wî.

**Kesret**: 1. Pirranî, zehfî, zêdehî, fezlehî. 2. Dijbera wehdetê, qerebaliğî.

**Keyfîyet**: 1. Ew qelîte, hal û rewşa ku tiştek li serê çawa çêbûye. 2. Kar û hadîse.

**Kîfayet**: Kafî-bûn, têrê-kirin, ne nuqsan, nezêde.

**Kîl**: Axeke bêhnxweş û paqijker e.

**Kîramen katibîn**: Nivîserên pak, katibên camêr. Ew ferîşteyên ku wezîfa wan nivîsandina sewab û gunehên mexlûqata ye.

**Konsil**: Encûmena rûhanî û rahiban.

**Krîstîyanî**: Filehtî, Îsewîtî, nesranîyet, mesîhîyet.

**Kronolojîk**: Zanista ku li gorî esasê rêza tarîxî ya çêbûna bûyeran wan dixe rêzê, hûrkolînê li ser wan dike.

**Kullîyat**: Geljimareya **kullîyet** e. 1. Temamîya tiştekî ye. 2. Temamê eserên nivîserekî ne. 3. Hemû berhemên di mijarekê de ne.

**Kunh**: Hemû esasên tiştekî.

## L-l

**Laqeyd**: 1. Bêqeyd, guh nedan, elaqe şanî-nedan. 2. Çi ji min re, serê min pê neketiye, serê min pê naêşe. Ji min re ne lazim e, min navê.

**Laûbalî**: 1. Ewê ku tirs û xwe bişûnde dana wî nîn e, bêhurmet, xatirnenas. 2. Bêteklîf, bêmarîfet. 3. Bêqeyd, bêderd, bêğem.

**Lehwîyet**: Leystik û keyfbûrandin, tiştên bêfeyde.

**Letafet:** 1. Letîftî, şîrînî. 2. Sipehîtî, Xweşikî, bedew. 3. Nezaket. 4. Nermî, bêhnferehî.

**Letîf**: 1. Xweş, nerm, narîn. 2. Bedew, şîrîn, netehl. 3. Rûhanî, ne cismanî. 4. Navek ji navên şîrîn ên Xuda ye.

**Letîfe**: Henek, tinaz, pêkenok, qerf, nukte.

**Lutf:** Kerem, îhsan, arîkarî, camêrî, merdî, qencî.

### M-m

**Mahîyet**: Regeza eslî ya ku tiştekî tayîn dike, heqîqet, rasteqîne, kakil.

**Makro:** Mezintirîn, ya mezintir, ya gewretir.

**Malayanî:** Bêmane, bêfeyde, gotina pûç, tişta ku mirov elaqedar nake, ew mijûlahî û tişta ku ji bo dîn û dinyaya mirovî feyda nade.

**Malik**: 1. Xwedî, sahib. 2. Ewê ku di tiştekî de teserruf dike, xwedî selahîyet, di dest de.

**Malûl**: Bi îllet, êşdar, jandar, nexweş, xeste.

**Manedar**: Bimane, bisirr, biraz, nevala, nepûç.

**Maqûlat**: Geljimareya **maqûlet**ê ye. 1. Ew tişta eqlber e, bi eql re guncaw e. mentiqdar. 2. Tiştên ku bi rêya eql tên fehmkirin, bi mûhakema eql tên bidestxistin.

**Maqûlîyet**: Rewşa tiştê ku ji eql nêzîk e, maqûltî ye.

**Marez**: Nexweşî, êş, bela û rewşa zor.

**Marîfetûllah**: Ji kûrahîya dilê xwe û bi yeqînî zanîn û naskirina Xuda.

**Marûf**: 1.Naskirî, hînbûyî, bi adetbûyî, ew tiştekî ji terefê her kesî ve tê zanîn. 2. Ew tişta ku dîn wî mûnasib û guncaw dibîne.

**Masîwa**: 1. Hemû heyberên ji bilî Xuda, ji ğeyrî Xuda. 2. Tiştên bi dinyayê re têkildar.

**Masîyet**: 1. Îsyan. 2. Tişta xirab. 3. Guneh.

**Materyalîst**: Ewê ku materyalîzmê dipejirîne, maddîyatê diperêse, bûjenperest.

**Mazî**: Zemanê bûrî, dema çûyî, wextê derbasbûyî, rabûrî. Berî dema têdeyî.

**Meclûbîyet**: Hatin girtin, rewşa aşiqbûnê.

**Mecnûn**: 1. Har û dîn, dîwane. 2. Eql ne temam. 3. Evîndarê dînane.

**Mecûsî**: Agirperest. Zerdeştî, ewê ku dînê Zerdeşt ji xwe re dîn dizane.

**Medar bûn**: Feyda wî lê bûn.

**Medar**: 1. Nuqta palpiştê, Sebeb. 2. Wesîle, wasîte. 3. Ew nuqta ku dema tiştekî gerok hereket dike pala xwe didîyê.

**Med-cezîr**: 1. Bi tesîra kişandina heyvê rabûn û nizmbûna ava behrê. 2. Nizmbûn-derketin.

**Medfûn**: Mêrê ku hatiye veşatin, hatiye definkirin, bi axê hatiye sipartin.

**Meğfîret**: Lê bûrîna Xuda ji bo gunehê evdê xwe, rehma îlahî, ğufran.

**Meğfûr**: Ewê hatî efûkirin, ewê bi ber efûyê ketî, ewê ku jê re dûa tê kirin ji bo Xuda gunehê wî efû bike.

**Meğmûm**: Ğemgîn, ğemxwar, kedermend, kovandar, mehzûn.

**Meğrûr**: Ğurûrmend, serxweveçû, tixûb-buhêr.

**Mehcûbîyet**: 1. Rewşa mehcûb-bûnê, şermezarî, şermende. 2. Rewşa tişta nixumandî.

**Mehel**: 1. Cih, mekan. 2. Teref, dever, mewqî.

**Mehtav**: 1. Tava heyvê, ronahîya mehê. 2. Heyva çardeh şevî.

**Mehwîyet**: 1. Rewşa xilasbûna ji nuqsanîyên beşerî û dinyayî. 2. Tewazû, nefsbiçûkî.

**Meîşet**: 1. Jîyîn, abûr. 2. Ew tişta ku ji jîyînê lazim.

**Meknûz**: Di axê de veşartî, di xezînê de veşartî.

**Melahet:** Bedewîtî, şîrîntî, xweşî.

**Melik:** 1. Xwediyê milk; padîşah, hukmdar, kral. 2. Xwediyê hemû heyberan Xuda ye. 3. Mîrê nîv-serbixwe yê ji bo hukmdarekî pêbend.

**Menfî**: 1. Neyênî, ne erênî, nelê. 2. negatîf, ne mûsbet.

**Menfîetdar**: Bi havil, bi feyde, bi kar û qezenc.

**Menfîetperest**: Ewê ku menfîeta xwe li pêşîya her tiştî dibîne. Meslehetçî, berjewend, menfîetçî.

**Menqîbe**: Ew pêkenok, hîkaye û qisseyên wan mirovên ku bi pirranî hatine naskirin, yan jî ketine tarîxê.

**Menzûme**: 1. Dor, dêzî, taqim. 2. Peyva bi qafîye, biwezn, hûnandî.

**Mercek**: Rojik, adese, mercek.

**Merdûd**: 1. Hatiye redkirin, hatiye qewitandin. 2. Hatiye birînkirin, hatiye pûçkirin, fikra nemeqbûl. 3. Ewê ku ji rehma Xuda hatiye qewirandin, melûn.

**Merez:** Nexweşî, êş, bela û rewşa zor.

**Mes'ûd**: Bextewar, bextiyar, kamiran, şadiman, dilşad, seadetmend, keyfxweş.

**Mesabe**: Qîmet, hukm, derece, mertebe, misl, wekî.

**Mesh**: 1. Bi dest hekandin, dûtin, seyandin. 2. Di dema desmêjê de bi dest serî vemiştin, şilkirin.

**Mesûlîyet**: Berpirsî, rewşa mesûlbûnê.

**Meşreb:** 1. Xuy, tebîet û mîzaca ku ji xulqîyeta kesekî tê. 2. Adet, kevneşopî. 3. Reftar, bizav, sekn, helwest.

**Meşrû:** 1. Ji bo şerîetê guncaw. 2. Ji bo qanûn û hiqûqê mûnasib. 3. Heqdar, mafdar.

**Meşrûîyet**: Rewşa meşrûbûnê; bi hiqûqê re guncawbûn, rewabûn.

**Meta**: Pertal, mal, serwet, hebûna ku jê re bihayê bazirganî heye.

**Metafizîk**: Ji fizîkê bi wêdetir, ew tişta ku bi hissan nayê îdrakkirin.

**Metanet:** Metînbûn, asêbûn, mûhkembûn, xwegirî, sağlemî.

**Mewcûdat**: Heyberan, mexlûqatan, hemû tiştên ku hatine pêkanîn.

**Mewta**: Ew mirovên mirî, can jidestdayî.

**Meyan**: 1. Navber, neqebeyn. 2. Kêm-zêde. 3. Qiwam.

**Meyl**: 1. Ber bi terefekî ve meyl û xwehr bûn. 2. Hezkirin, mehebbet. 3. Dil têde, hiş li serê.

**Mezalim**: Zulm û neheqîyan.

**Mezbele**: Cihê maliştinê, kewaşegeh, ziblgeh.

**Mezc**: tevlî, tevlîbûneke ku ji hev veqetandin ne mûmkin e.

**Mezc-kirin**: Tevlî-kirin.

**Mezher**: 1. Cih, tişt û maddeya ku tiştek lê zahir û xuya dibe. 2. Gihayî, naîlbûyî. Ewê rûmet pê hatî dayîn.

**Mezherîyet**: Rewşa xuyabûnê.

**Mêzîn**: 1. Terazî. 2. Aletê kişandinpîvanê. 3. Ew terazî û şehîna manewî ya kul i axretê pê guneh û sewab, qencî û xirabî têne **kişandin.**

**Mezîyet**: Xusûsîyeta ku tiştekî ji tiştên din vediqetîne, wî ji wan çêtir dike û xusûsîyetê jê re bexş dike.

**Mezmûm**: Ewê ku zemma wî hatiye kirin, ewê ku bi xirabî behsa wî hatiye kirin, ewê ku eyb û qusûr jê re hatine çêkirin.

**Mihnet**: 1. Tengasî, zehmet, ezîyet. 2. Derd, bela, mûsîbet.

**Mîkro**: Ew qeder biçûçik e ku bes bi arîkarîya mîkroskopê tê dîtin.

**Minnet**: Li hemberî nîmetekê xwe ji hêla manewî ve deyndar hiskirin, di bin bar de man.

**Minwal**: Terz, teher, rê, sûret, şekl, awa.

**Mîrac**: Derketina asîman, bi asîmanî ve bilind bûn. Derketina Mezinê me Hezretê Mûhemmed ji bo asîmanî û hevdîtina wî bi Xuda Teala re.

**Mîstîk**: 1. Ew tiştê ku alîyê wî yê nehanî heye, bisirr. 2. Ew tiştê bi Mîstîzmê re elaqedar, sirrî, tesewwufî. 3. Mûtesewwif û ew kesê ku xwe ji heyata dinyayê dûr kiriye û xwe weqf kiriye ji bo qezenckirina rizamendîya Xuda.

**Mîyar**: 1. Pîvana ayarê madenên qîmetdar. 2. Aletê ku dereca safîtî û qîmetê tiştekî şanî dide.

**Mîzan kirin**: Pîvan, kişandin.

**Monîst**: Terefdarê monîzmê, yekparêz, tekperest.

**Mûamelat:** 1. Mûamelatan, kirinan. 2. Di fiqhê de hiqûqê kesayetî û malbatî, eynî heq û mafên ku bi mîras, ticaret, deyn û kar re elaqedar in.

**Mûareze**: pevçûn, kêşmekêşî, şerrê bi peyvê.

**Mûbah:** Serbest, kirin û nekirina wê wekhev e. Ewê ku di kirina wî û ne kirina wî de sewab û guneh nîn e.

**Mûbtezel**: Bêheysîyet, bêşeref, rezîl û riswa.

**Mûcahede**: 1. Mûcadele, hewldan, ğeyret. 2. Kirina tişta ku nefsa mirov naxwaze bi vî awayî ji bo gihana hestên manewî terbîyekirina nefsê ye.

**Mûcazat**: 1. Cezayê ku li hemberî sûc û qebahetekê tê dayîn. 2. Hemberî.

**Mûcehhez**: Hatiye xemilandin, kêmasî jê hatine birin, amade ye, hazir e, likar e.

**Mûcella**: Ewê hatiye cîlakirin, bicîla, ronak, berraq, hatî berraqkirin.

**Mûcerred**: 1. Xwerû, tişta ku ne cism e. 2. Saf û xalis e. 3. Hatiye tecrîdkirin, hatiye tazîkirin.

**Mûcib**: Ewê ku îcab dike, lazim dike, gerek dike.

**Mûctehid**: Alimê ku hukm ji ayet û hedîsan derdixin.

**Mûemma:** 1. Ew tişta ku maneya wê zor tê fehmkirin. Asêpirs, pirsgirêk, korgirêk.

**Mûessese**: 1. Damezraw, hatiye tesîskirin, hatiye avakirin, hatiye çespandin, sazî. 2. Avahîya mûessesê. 3. Ew dezgeha ku wek manewî bicih bûye. Ew fikr, hizr û telaqqîya ku tesîrê li civakê dike.

**Mûessir**: 1. Ewê ku tesîr dike, şopê dihêle. 2. Ewê ku kederan dide. 3. Ewê ku peyva wî derbas dibe, hukmê wî dimeşe.

**Mûezzam**: 1. Zehf mezin, gellek gir. 2. Giring, mûhîm. 3. Gewre, mûhteşem. 4. Rêzdar, mûbeccel.

**Mûfekkîre**: Hêza fikirînê.

**Mûfredat**: Tefsîlat û kitekitehîya tiştên aîda maddeyekê, yan jî mijarekê.

**Mûğayir**: Ne guncaw, ne mûnasib, zid, dijber, mûxalif.

**Mûhakeme**: 1. Ew rûniştina dadgehkirinê ya li hizûra dadger e. 2. Hizrkirin, fehmkirin.

**Mûherref**: Hatiye tehrîfkirin, ji eslê wê hatiye dûrkirin, hatiye guherandin.

**Mûhtewa**: Naverok, fehrest.

**Mûkellef**: Ewê ku berpirsîya dikeve ser milê wî mecbûr e, wê bîne cih, Mesûl, binbar, berpirs.

**Mûlaheze**: 1. Têbînî. 2. Bi diqqet û şağ û çiqilên wê ve hizirîn. 3. Bi diqqet meyzandin.

**Mûlaqî**: 1. Ewê ku hevdîtinê dike. Ewê ku diaxive. Ewê ku dîdarê dike. Ewê ku mûlaqatê dike. 2. Hevdîtin, çevpêketin.

**Mûnadî:** Gazîker, banghildêr, delêlî.

**Mûnewwer**: 1. Bi ronahî, rewşenbîr. 2. Hatiye rohnîkirin. 3. Zana, kulturmend.

**Mûnezzeh**: 1. Bê îhtiyac, yê ku îhtiyaca wî bi ti kes û ti tiştî nîn e. 2. Hatiye paqijkirin, temîz, salim, dûr.

**Mûnferid**: Bi tenê mayî, tek, cuda, bi tena serê xwe.

**Mûnhesir**: 1. Hatiye hesrkirin, hatiye veqetandin, tişta ku ji bo tiştekî yan jî kesekî hatiye texsîskirin. 2. Hatiye dorpêçkirin. 3. Sînordar.

**Mûnker**: 1. Ew tiştê ku tê înkarkirin, tê redkirin, qebûl nabe. 2. Ne meqbûl, nenas. 3. Ew tiştê ku kirina wî ji hêla îslamê ve rast nayê dîtin.

**Mûqabele**: Li hemberî hev, cewab.

**Mûqabil**: 1. Li hember, bedel. 2. Di hember de wek mûadil.

**Mûqawemet**: 1. Ew berxwedana ku li dijî hêza tesîrker qeweta xwe li holê datîne. 2. Rawestina li hemberî, berxwedan, serî ji hêza hember re netewandin, teslîm nebûn, ram nebûn.

**Mûqayese**: 1. Qiyaskirin, anîn hevber. 2. Pîvan.

**Mûqedder**: Nivîsa enîyê, ew teqdîra ku ji terefê Xuda ve ji ezelî de hatiye dîyarkirin.

**Mûqeddes**: Pîroz û paqij. Mûbarek. Qudsî, ezîz.

**Mûqeyyed**: 1. Bi qeyd û bend, girêdayî. 2. Ewê ku xwe bi xwe heyber nabe, ewê ku hebûna wî bi hebûna yekî din ve hewcedar e.

**Mûqtedir**: Xwedî desthilatî, xurt, bihêz, biqewet, îqtîdarmend. Ewê ku kar bi dest wî ve tê.

**Mûqteza**: 1. Tiştê ku îqtîza dikin, tiştên lazim û pêdivî, lazimî, pêdivêyî. 2. Encam û paşînek.

**Mûsademe**: Li hev ketin, li hev xistin.

**Mûsamahe**: Çavmiç-kirin, xweşbînî, guhnedan.

**Mûsamehekar**: Ewê ku mûsameha dike, xweş dibîne, çavmiçker, bi tolerans.

**Mûsbet**: 1. Ew tişta ku delîla wê hatiye şanîdan, rastbûnîya wê hatiye fehmkirin, hatiye îsbatkirin. 2. Sağlem, qewîn. 3. Tişta nemenfî, erênî, pozîtîf.

**Mûsellet**: Ewê ku zêde bi ser de çûye. Ewê ku zehf aciz dike. Ewê ku zehf zêde reht dike, devavêj.

**Mûstecab**: Ew dûaya ku bersiva wê hatiye dayîn, ewa ku hatiye qebûlkirin.

**Mûsteğnî**: 1. Bêminnet, ewê ku îhtiyaca wî nîn e. 2. Ewê ku tenezzul nake. 3. Çavtêr, qenaetkar. 4. Ewê ku nazik tevdigere.

**Mûsteheq**: Ewê ku heq kiriye, ewê ku îstihqaqê wî ye.

**Mûsteqîm**: 1. Rêya rast û durust. 2. Rast, ne berwar. 3. Bi exlaq, bi îffet.

**Mûsterîh**: 1. Ewê di nav hizûrê de, dilaram, dilrehet. 2. Emîn.

**Mûstesna**: 1. Ew tişt û kesê ku hatiye îstisnakirin, ewê ku naşibihe dîgeran, ewê bênezîr, bijarde, mûmtaz. 2. Cihêwaz. 3. Li derveyî qaîdeyan.

**Mûsteşriq**: Şerqîyatçî, rojhilatnas, oryantalîst; ew kesê ku bi dîn, ziman, kultur û tarîxa milletên rojhilatî re mijûl dibe.

**Mûşahede**: 1. Dîtina tiştekî bi çavan e. 2. Seyira manewî.

**Mûşerref**: Şerefmend, ewê ku şeref jê re hatiye dayîn.

**Mûşexxes**: Tişta ku hatiye bişexskirin, bicismkirin, bişeklkirin. 2. Tişta ku bi çavan tê dîtin û bi destan tê destlêxistin.

**Mûşfiq**: 1. Şefqetmend, şefqetkar. 2. Dilovan, merhemetmend. 3. Ewê ku elaqedar dibe, giringîyê bi yekî dide.

**Mûşkil**: 1. Zor, dijwar. 2. Zehmetî, asteng.

**Mûtabiq**: Ewê ku ji hev re biaheng in, lihev tên.

**Mûtad**: Bi adet bûye, hatiye hînbûn, her wextî.

**Mûtedil**: 1. Ne kêm ne zêde, di rewşa nîvî de bûn. 2. Ewê hêdîka diçe, ne asê ye, zêde bi pêşve naçe. 3. Mûnasib, guncaw. 4. Nermhewa.

**Mûteessib**: 1. Ewê ku teessuba wî heye. Ewê ku di berevanîya mijarekê de dikeve îfratê. 2. Ewê bi dînê xwe û adetê xwe ve bend e, dîndar e.

**Mûteessibane**: Bi raperestane, bi kor-korane.

**Mûtefekkir**: Ewê ku tefekkur dike, hizrmend, fikrmend, ramandar.

**Mûtleq**: 1. Ewê ku bi ti qeydekî ve ne pend e, bi tiştekî ve negirêdayî ye. 2. Ewê ku hebûna wî bi hebûna tiştekî din ve ne hewce ye. Ewê ku hebûna wî bi wî bi xwe ye. 3. Heybera mûkemmel.

**Mûttalî**: Hîn bûye, xeber standiye, agahdar, zana.

**Mûttesif**: Ewê ku hatiye wesfkirin, biwesf e, sifetmend e.

**Mûwacehe**: 1. Rûbirû hatin, hember, berê-xwedan. 2. Alîyê rast, alîyê îstîqametê.

**Mûwafiq**: Guncaw, mûnasib, di cihê xwe de.

**Mûwazene**: 1. Wekhevbûna halê du tiştan, hevkêş bûn. 2. Mûqayese. 3. Raman, tedbîr.

**Mûweffeq**: 1. Ewê bi ser ketiye. 2. Ewê ku encam wergirtiye.

**Mûxtar**: Bijardî, neqandî, guzîde.

**Mûyesser**: 1. Ew tişta hêsan, ewê ku bi sehnayî çêdibe. 2. Nesîb. 3. Tişta ku hatiye hêsankirin.

**Mûzeyyen:** Hatiye tezyînkirin, hatiye xemilandin, hatiye xweşikkirin, zînetdar, bi xeml û rewş.

**Mûzir**: Zirarmend, zîyandar, ewê ku zirar dide, bêkêr.

## N-n

**Nadîde:** Kêm, giranbiha, biqîmet.

**Naîl:** Pê gihayî, bi hedefê gihayî.

**Naîlîyet**: Rewşa gihaştinê.

**Naqis**: Nuqsan, kêm, netemam.

**Naxweş**: 1. Mekroh, ne xweşik. 2. Ewê ji tebîet û mîzacê re ne guncaw û mûnasib.

**Nazan**: 1. Nezan, cahil. 2. Hov, bêterbîye, serhişk.

**Nebatat**: Geljimareya **nebatê** ye, ew jî giya ye.

**Necaset**: 1. Pîsîtî. Mûdarîtî. 2. Berevajî, tiştên pîs.

**Necis**: Pîs, nepaqij, mûdar.

**Nemerd**: Ewê ne camêr, bêesl, nehêja, tirsonek, newêrek.

**Nemûtenahî**: Bêdawî, ne serî, ne binî.

**Neqqaş**: Ew hunermendê ku bi boyağê dîwaran dixemilîne.

**Neqş-kirin**: Bi awayekî wisan baş di zêhnê xwe de bicih kirin ku careke din bi hêsanî ji bîra mirovî neçe, yan jî xîç nebe.

**Neseb**: Bavik.

**Ness**: 1. Hukmê eşkere, delîla qet'î. 2. Ew ayet û hedîsa ku hukmê qet'î anîye.

**Neşw û nema**: Gihiştin û mezin bûn, hate ajotin û derket.

**Neşwe**: Serxweşîya keyfxweşî, şadmanî, rûkenî, coş û xuroşî'yê.

**Nezafet**: Paqijî, temîzî, pakî.

**Nezaket**: Nazikîtî, zarîftî, ziravî, tenikî, terbîye, edeb.

**Nezar ber qedem**: Nêrîna li ser ling.

**Nezerîye**: Dîtin, nêrîn, teorî.

**Nezîh**: 1. Paqij, temîz, pak. 2. Sipehî, kubar, nefsezîz.

**Nibiwwet**: Pêğembertî, resûltî, qasidtî.

**Nifûz**: 1. Bi navê ve çûn, bi wêde çûn. 2. Derbasdar. 3. Derbasdarbûna ferman û hukmê kesekî.

**Nimûneya îmtîsalê**: Nimûneya ku mirov ji xwe re dike mîsal û mirov li pey wê diçe.

**Nîrvana**: Rewşa bextewarbûnê ye. Ew di ola Bûdîzmê de hedefa nîhaî ye, ew ji bo îfadekirina xilasîyê bikartê. Ev peyva nîrvana, ji bo vemirîna agir tê îstîmalkirin. Ew bi maneya "vemirîn, sakinbûn"ê tê. Ew rewşa ji holê rabûna cehaletê ye. Nîrvana rewşa dawîn e ku Bûdîst dixwazin bigihinê.

**Nizûl**: Ji jorê ve ber bi xwarê ve peyabûn, nazil bûn. 2. Di esnaya rêwengîyê de barê xwe li cihekî danîn.

**P-p**

**Pêğemberên ‘îzam**: Pêğemberên mezin.

**Pehnî**: Qismê paşîya ling e.

**Pêvajo**: Qunağ, merhele, sefhe, qedeme.

**Peyapey**: Qism bi qism, li pey hev.

**Piştpalk**: Rota sitûr û sitûna mezina k udi ber dîwar de tê çikandin ji bo pala dîwêr bikeve serê.

**Pûsûla**: Qiblename, cîhetnuma, şanîder.

**Pût**: Senem, hezkirî, dilketî, mehbûb.

**Q-q**

**Qabil**: 1. Cins, nesl, cure, çînî, sinif. 2. Wekî.

**Qadirê mûtleq**: Xuda Teala ye ku ew tekane xwediyê hemû hêz, qewet, şîyan û qudretê ye.

**Qaîm**: 1. Şipya. 2. Mewcûd, heye. 3. Ewê ku cihê tiştekî digre.

**Qedîm**: Bi zemanên zehf kevin re elaqedar, tarîxî, mêj, kevnar, dêrîn.

**Qedrnasî**: Ewê ku qedr û qîmet nas dike, halê qedr û qîmet zanînê ye, wefadarî.

**Qehhar**: 1. Ewê ku qehrê dike, mehû dike. 2. Ellah, xwediyê qewet û qudreta ku qehr dike, têkdibe.

**Qentar**: 1. Ew aletê ku di pîvana tiştê giran de bikartê. 2. Ew pîvana giranîyê ya ku ji 44 okkayan îbaret e.

**Qeswet**: Tengasîya hinavî, ğem, kul û keder, qesawet.

**Qirat**: 1. Biha, qîmet, qelîte, sewîye. 2. Pîvana du desîgramî ya ku ji bo kişandina kevirên bi qîmet de tê bikaranîn.

**Qistas**: 1. Pîvan, mîyar, nisbet. 2. Terazîya mezin, mêzîn, şehîn.

**Qiwam**: 1. Rewşa guncawtira tiştekî, mûnasibtirîn dereceya tiştekî. 2. Kamilbûn, pêkhatina şertên lazim. 3. Palpişt, bingeh. 4. Dereca sitûrbûnê.

**Quddîse sirrûh**: “**Sirr û nehanîyên wî hatine paqijkirin**” Yani; Xuda sirrên wî (nehanîyên alema navxweyî ya wî) ji her cure peşk û lekeyên manewî temîz bike!

**R-r**

**Ram bûn**: Mûtî bûn, teslîm bûn, desteber bûn, ketina bin

fermana yekî din, têkçûn, têkşikestin, bezîn, binketina xwe qebûlkirin.

**Ram**: Teslîm, radest, berdest.

**Raman**: Hizr, fikr, endîşe.

**Rayîha**: Bêhn, bêhna xweş.

**Reaksîyon**: Bertek, berepê.

**Realîte**: Heqîqet, rasteqîne.

**Rehabîlîte**: Ew tedawîya ku tê kirin ji bo mirovekî bixe rewşeke wisan ku karibe kar bike, îş bibîne, yan şil û şehtîya wî jê bibe, yan jî têrê-nekirina wî jê bibe.

**Rehmetûllahî eleyh**: Ev hevoka dûa ye: Rehma Xuda li ser wî be!

**Rehwan**: 1. Bazdana hesp e ku nahêle siwarê wî biheje. 2. Bazdan û rêveçûna wiha.

**Rencîde**: Ewê ku ji bo êşandina wî sebeb çêbûye, hatiye ğeyidandin, dilê wî hatiye hiştin, dilê wî hatiye şikestin.

**Reqîq**: 1. Zehf tenik, zehf zirav, nazik, narîn. 2. Dilnerm, hestgerm, dildayikî.

**Reqqase**: Ew jina reqsvan, dansoz.

**Reşbînî**: Bêhêvît, bêumîdî, ji paşerojê ti hêvîyek nebûn, karamsarlik.

**Rezzaq**: Ellah, ewê ku rizqê hemû mexlûqatê xwe dide.

**Rîcal**: 1. Welîyan. 2. Erkanê hikûmetê, zilamên dewletê. 3. Mêran, zilaman.

**Riqqet**: 1. Ziravî, tenikî. 2. Nezaket. 3. Di vegotina xwe de nazikî. 4. Merhemet kirin.

**Rîsalet**: 1. Resûltî, pêğembertî, nebîtî. 2. Teblîğkirina peyva xwe ji kesekî, yan jî terefê dîger. 3. Qasidîtî.

**Rîyakar**: Durû, zerqekar.

**Rîyaset**: Reîstî, serokatî, serdarî, serekvan, ser bûn.

**Riyazat**: Geljimareya **Rîyazetê** ye. Ew jî ev e; mirov hindik bixwe, hindik raze, tim îbadetê bike. Bi vî awayî, nefsa xwe terbîye û perwerde bike, bi xwe karibe, xwe li hemberî heramîyê bigre, destê xwe ji zewq û sefaya dinyayê bikişîne û nefsa xwe bişikîne.

**Riza'ya îlahî**: Razîbûna Xuda, memnûnbûna Xuda, xweşbûna Xuda.

**Ruhbanî**: Terzê jîyana rahib, papaz û keşîşan. Jîyîna li dêrê.

### S-s

**Sadir bûn**: Derketin, hatina meydanê, xuya bûn, zahir bûn.

**Safîyet**: Xasî, temîzî, pakîtî, paqijîtî.

**Salim**: 1. Ne nexweş, ne seqet û şilûşeht. 2. Bêeyb, bêqusûr. 3. Bêtirs, bêendîşe, emîn.

**Se‘y û ğeyret**: Xebat kirin, hewldan, cehd kirin.

**Seba**: Ew bayê sivik ê ku ji rojhilatî ve tê, bayê hînik, bayê xweş.

**Sebat**: Li ser peymana xwe man, bi wefabûna ji bo ehda xwe, bi qerar bûn, di cihê xwe de rawestin, sabit bûn.

**Sebîl**: 1. Rê. 2. Ew çeşme û cihê ku li kenarê rê hatiye çêkirin û ji bo rizaya Xuda belaş avê dide rêwîyan, sebîlxane. 3. Ew ava ku ji bo xêrê bêbedel tê belavkirin.

**Seda**: 1. Deng. 2. Olan. Ew dengê ku vedide û bi şûn de vedigere.

**Sedeqa carîye**: Ew xêr û hesenat e ku her tim dibe wesîleya ecr û sewabê. Her wekî mizgeft, mekteb, medrese, çeşme, kehnî, bîr, çal, pir, nexweşxane û yên wekî van e.

**Sefa**: 1. Ji kul û kederan dûr man. Bêfikarî, hizûr û keyfxweşîya hinavî. 2. Keyf û zewq. 3. Safîtî, berraqîtî.

**Sefahat**: 1. Zêde zêde heyrantîya ji bo keyf û zewqa dinyayî. 2. Îsrafkirina mal. 3. Zewqperestî, keyfperestî.

**Sefhe**: Pêvajo, qunağ, merhele, werçerx.

**Sehîh**: Rast, heqîqet, sağlem, derbasdar.

**Selahîyet**: Karbidestî, peywirdarî.

**Selaset**: Di îfadê de aheng, zelal, hêsankarî û herkebarî.

**Selîm**: 1. Semîmî, temîz. 2. Mûkemmel, tekûz, sağlem, rast. 3. Bê xeter, bê tehlûke, bê zirar.

**Selteneta îlahî**: Hukmranîya îlahî, îhtîşam, mûezzamîyet.

**Sembolîk**: 1. Bi sembolê re elaqedar. 2. Temsîla bi miqdarekî hindik.

**Sened**: 1. Tişta ku pal pê tê sipartin, tê îsnadkirin. 2. Ew kağeza ku di navbera du mirovan, yan jî ji du mirovan zêdetir de hatiye tenzîmkirin û ew dide zanîn ka heqek, malek, yan jî diraveke bi deyn aîdê kê ye. 3. Ew peyva ku delîleke bi qewet tê jimartin.

**Sentez:** 1. Bi yek-kirin, yek-kirina regezên curecur, ji tiştên cuda cuda tiştekî nû anîna meydanê, terkîb. 2. Usûla ji kitekiteyan çûna temamê. 3. Unsûra ku di

sewîya bilind de ji pev kelîna tez û antîtezê tê meydanê.

**Serlewha**: Serdêra nivîsê, sernivîs, serkelam.

**Serzeniş**: Minnet kirin, şenaet kirin, îtab kirin, erz şikandin.

**Setr**: Nixumandin, sergirtin, veşartin.

**Sexawet**: Kerem, merdî, camêrî.

**Sidretû'l-mûnteha**: Ew cih û meqam e ku di rêwîtîya Mîracê de Cebraîl -eleyhisselam- ji Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî wesellem-re gotibû; "heke ez ji vir û biwêdetir gavekê bavêjim, ezê bişewitim" û Mezinê me Pêğember jî ji wir û biwêdetir wek bêyî Cebraîl derbas bûye, çûye.

**Sifetên sibûtî**: Sifetên ku bi hebûna Xuda re elaqedar in [heyat, îlm, semî, beser, îrade, qudret, kelam, tekwîn].

**Sifetên zatî**: Ew sifetên ku yên zatê Xuda ne, ew sifetên ku zid û dijê wan nayê bîrbirin û fikrkirin. [Wucûd, qidem, beqa, wehdanîyet, mûxalefetûn lîlhewadîs, qiyam bi nefsihî]

**Sikûnet**: 1. Rawestin, bêhereketî. 2. Bêhnvedan, hatin birrîn, razan. 3. Hizûr, aramî, rehetî.

**Silh**: 1. Lihevhatin, aştî. 2. Rakirin xusûmetê ji navbera xesm û neyaran. 3. Rehet, hizûr, sikûnet.

**Silsîle**: 1. Zincîr. 2. Ew helqerêza ku tiştên li hev taqîb dikin, wê pêktînin.

**Sinûhat**: Tişta ku tê bîra mirov, diniqute dil, tişta ku di dil de çêdibe.

**Siqlet**: 1. Giranî, bar. 2. Tengasî, dilrehtî.

**Sîrata mûsteqîm**: Rêya rast û durust, rêya Îslamîyetê. Rêya heq, Rêya rasttirîna ku Xuda jê razî. Rêya ku pêğember, welî, salih, siddîq li serê ne.

**Sirûr**: Keyfxweşî, şadmanî, dilşadî.

**Sîtil**: Ew beroşa mezina ku av têde tê germkirin.

**Sûa zenê**: Hizirîna xirab, zena nebaş, şubhe, şiwar, guman.

**Subjektîf**: 1. Tişta aîdê failî, kirdeyî; ewa ku di şûna heqîqeta xwe de xwe dispêre fikr û hestên failî. 2. Kesayetî, şexsî, takekesî, ferdî.

**Suflî**: 1. Nizm, yê li jêrê, nehêja. 2. Ewê ku qiyafetê wî pîs be, xirpanî, xirto-pirto.

**Sûlte**: Otorîte, desthilat, selahîyet.

**Sunnetê mûekkede**: Ew nimêjên sunnet in ku Pêğemberê me kêm caran terk kirine û bi berdewamî kirine. Ew jî deh reket nimêj in: 2 reket, berî nimêja fecrê ne. 2 reket berî nimêja nîvroyê û 2 reket jî piştî wê ne. 2 reket piştî nimêja meğribê ne. 2 reket jî piştî nimêja eşayê ne.

**Sûreta**: 1. Di dîtinê de zahîren. 2. Bi derewînî, formalîte.

## Ş-ş

**Şablon**: Qalib.

**Şal**: 1. Pantlon. 2. Qumaşê tenik ê bi qîmet ê ku ji hirîya safî hatiye hûnandin. 3. Stûpêç, stûmal.

**Şamil**: Dorgir, dorpêç, di xwe de digre, di nav xwe de dihewîne.

**Şamil**: Tevgir, hemûgirtî, Tişta ku dixe nava xwe, dide ber xwe, di xwe de dihewîne.

**Şayan**: Mûnasib, guncaw, lê tê, babet, layiq.

**Şefaeta uzma**: Mehdera mezintirîn. Roja qiyametê şefaet-kirina Mezinê me Hezretê Pêxember ji bo mûmînan.

**Şemûs**: Har, nesernerm, nehir, nehelîm, nestûxwehr.

**Şer**: 1. Xirabî, fenatî, dijbera xêrê. 2. Pevçûn, levdan, nîfaq. 3. Ew kesê ku xirabîyê dike.

**Şerbet**: Ava tirî, ava şîrîn, tirhav.

**Şerîr**: Xirab, xirabkar, bêxêr, fesadçî.

**Şerr:** Ceng, herb, qal, levdan, lihevxistin.

**Şeva arûsê**: 1. Şeva dawetê. 2. Ew şeva ku Hezretê Mewlana têde wefat kiriye ku wî mirin ji bo xwe wuslet wergirtiye.

**Şevnem**: Xûsîtî, jale.

**Şîar**: 1. Nîşan, berhem, îşaret, elamet. 2. Sembol, remz, elametê farîqe.

**Şimûl**: 1.Ewa ku dide ber xwe, dixe navbera xwe. 2. Aîdbûn, şanîdan.

**Şopîner**: Taqîbçî, peyrew, ewê ku di fikr û bawerîyekê de, yan jî di tiştekî din de li pey rêç û şopa yekî din diçe, wî ji xwe re lîder û pêşîvan qebûl dike.

**Şûheda**: Geljimareya **şehîd** e. Bi maneya şehîdan e.

**Şukran**: 1. malavayî, spasdarî, ew helwesta başa ku li hemberî qencîyê tê şanîdan. 2. Deynê dil, minnetbarî.

## T-t

**Tabî**. 1. Ewê ku li pey mirovekî diçe. 2. Ewê ku stûyê xwe xwehr dike, pêbend dimîne, ewê di bin fermana yekî de ye.

**Tabîîn**: Ewê ku gihaye nifşa sehabîyan û ji wan li hedîsan guhdarî kiriye.

**Tadîla erkanan**: Edakirina îbadetan bi tekûzî, bi awayekî rîayetkirina esasên îbadetan; nimêjkirin bi awayekî ji usûlên wê re guncaw û mûnasib.

**Tadîlat**: Sererastkirinan, guhertinan.

**Taybetmendî**: Xusûsîyet, mezîyet, qabilîyet.

**Tazîm**: Hurmet, rêzgirtin û mezinkirin.

**Tazîye**: Sersağî xwestina ji bo ehlê mirî. Hevğemîya xwe îfadekirina ji bo ehlê mirî.

**Te'lîf**: 1. Berhem nivîsandin, komkirin, rêzkirin. 2. Pev-xweşkirin, pev-dan-hezkirin, lihevanîn.

**Te'yîd**: 1. Xurtkirin, destek-kirin, sağlemkirin. 2. Rast-dêrîn, xurt-kirin.

**Teahhud**: 1. Sozdana ji bo kirina tiştek û karekî, hildan ser xwe, li xwe barkirin. 2. Ew girêbesta resmî ye ku di rewşa mirov kar bike de wê li xwe bar dike û xwe jê berpirs dizane.

**Teb'a**: 1. Raîye, ewê ku din îdareya dewletekê de bin, ewê ku peyrewê yekî din e. Xelk, ehalî.

**Teblîğ:** 1. Gihandin. 2. Vegotina dîn ji dîgeran re bi vî awayî xebatkirin ji bo belavkirin û zêdekirina wî.

**Teblîğat**: Geljimareya **teblîğ** e, yanî tiştên ku hatine ragihandin.

**Tecellî**: 1. Xuyabûn, hatin dîtin. 2. Naîlbûna ji bo kerem û lutfa Xuda.

**Tecessum**: 1. Cism û wicûd anîna meydanê. 2. Hatin dîtin, xuyabûn. 3. Candar bûn, bi cism bûn.

**Techîz**: Temamkirina tiştên pêwîst, xemilandin, tekûzkirin.

**Tedarik**: Hazirî, amadekarî, di dest xwe de hiştin, sağlem kirin.

**Teelluq**: 1. Elaqe, nisbet. 2. Mûnasebet, îrtîbat.

**Teessub**: Terefdarîya zêde, pêbendîya kor korane, israra di batil de.

**Tefekkura mewtê**: Fikirîna di mirinê de, hizirîna mirinê û hazirîya manewî ji bo axretê.

**Tefeyyuz**: Feyz dîtin, pêşveçûn, bilindbûn.

**Tefrît**: Zêde zêde îhmalkirin û sistî şanîdan.

**Tehlîl**: Li regezan veqetandin, helkirin, çareserkirin, analîz, vewejartin, nirxandin, bihapêdan.

**Tehrîf**: 1. Di peyvan de guherandina cihê herfan bi hev, bi vî awayî maneya wan xirab-kirin. 2. Xirab kirin, guherandin.

**Tehrîk**: 1. Lebitandin, dan hereketkirin, ji cih leyistandin, tefgerandin. 2. Navtêdan, teşwîqkirin. 3. Harkirin, nav lê xistin.

**Tekamul**: Pêşhata ku gav bi gav tê meydanê. Guhertina ku gav bi gav pêktê, bi kemalê gihan.

**Tekrîm**: Îhtîram şanîdan, bilindkirin, qedr-girtin, mezin kirin.

**Tekzîb**: Derewandin, şaş qebûlkirin, nerast-zanîn, derewderxistin, redkirin.

**Telaqet**: Ziman-serbest, xeber-fesîh, peyv-tekûz.

**Telîdank**: Gustîlka dirûnê, gustîloka terzîtîyê.

**Telqîn**: 1. Fikrê xwe dan qebûlkirin, dan hînkirin. 2. Li ber serê yekî ku li ber mirinê be dubarekirina kelîma şehadetê, bi vî awayî pê da gotin e.

**Teltîf**: 1. Dil xweş kirin, dilmisdan. 2. Bi tiştên wekî rutbebexşkirinê, nîşan-bexşkirin û meaş zêdekirinê, keyfxweş kirin. 3. Îhsan kirin û bexşîş dan.

**Teltîfen**: Bi teltîfkirinê mûkafat dan.

**Temakarî**: 1. Hirs, çikûsî, çavbirçîtî. 2. Bi şiddet xwestin, Arzûya di dereca îfratê de.

**Temayul**: 1. Bi terefekî ve rast xwehrbûn, meylkirin. 2. Terefdarbûna ji bo tiştekî yan kesekî ye, 3. Elaqe-şanîdan e.

**Temayuz**: Xwe şanîdan, bilindbûn.

**Tembîh**: 1. Şîyar kirin, îqaz. 2. Di bîr xistin, pêşagahî pêdan, îxtar kirin.

**Temrîn**: Dubare, dan hînkirin, îdman dan kirin.

**Tenaqud**: Nakokî. Ewê ku du peyvên wî ji hev re dij bin.

**Teneşîr**: Ew depê bi lingê ku mirî li serê tê şûştin.

**Tenkîd**: 1. Veqetandina qencî ji neqencî. 2. Di bara tiştekî de fikr birêvebirin, aliyên baş û nebaşê wî dîyar kirin, rexne lê girtin.

**Tenwîr**: 1. Rohnî kirin. 2. Agahdar kirin.

**Tenzîm**: 1. Bi rêxistin kirin, xistin nîzamê. 2. Sererastkirin, çaksazkirin.

**Teorî**: Dîtin-nêrîn, nezerî, raman û hizr.

**Teorîsyen**: Ewê ku teorîyê li holê datîne, bavê fikrekî, bîrbir.

**Teqwa**: 1. Tirsa ji Xuda, bi tirsa ji Xuda xwe parastina ji heram û qedeğeyên dînî. 2. Bicihanîna fermanên Xuda û xwe parastina ji nehyên Xuda.

**Tereqqî**: 1. Zêdekirin, pêşveçûn, bilindbûn. 2. Hatina ji bo halekî baştir.

**Tesanud**: Palpiştî.

**Tescîl**: Di sicîlê de tomarkirin, di deftera resmî de nivîsandin, bi awayekî resmî erêkirin û pejirandin.

**Tesellut**: Mûsellit bûn, dev avêtin, li serê yekî bûne bela.

**Teselsul**: Peyapey hatin, hev taqîbkirin, zincîr-bûn.

**Tesennû**: 1. Xwe xemilandin bi awayekî zêde. 2. Xwe çêkirin, di eserekê de bi xemilandinên zêde ku êdî dikeve sînorê bi derew çêkirinê.

**Teserruf**: 1. Selahîyeta bikaranînê. 2. Sahib bûn, xwedî bûn. 3. Bi îdare îstîmalkirin. 4. Tesîra manewî ya welîyan li ser tişt û heyberan.

**Tesewwir**: 1. Di zêhnê xwe de zindîkirin, xeyalkirin, anîn ber çavan, fikirîna tişta ku mirov bike. 2. Fikirîna kirina tiştekî.

**Tesfîye**: Safîkirin, temîzkirin.

**Tesîs**: 1. Damezirandin, anîn meydanê. 2. Bingeh rûkirin. 3. Dezgeha ku hatiye çespandin, hatiye avakirin.

**Teskîn**: Rawestandin, hedan anîn, dan sekinandin.

**Teslîmîyet**: Teslîm bûn, stû xwehrkirin, riza şanîdan, îtaetkirin.

**Tesrîh**: Îfadekirina bi awayekî zelal û eşkere ku tereddud û şubheyan ji holê radike, eşkere eşkere gotin.

**Teswîr**: 1. Resmê yekî çêkirin. 2. Resm, fîgur, portre. 3. Bi nivîsê tarîfkirin. 4. Sûret-zindîkirin, anîn ber çavan, şeklê tiştekî anîn bîra xwe.

**Teşbîh**: Bi hev şibihandin, li hev qiyaskirin.

**Teşne**: 1. Tî, têhn. 2. Bi arzû, bi hewes, xwazyar.

**Teşyî**: Derbaskirina mirovê ku derketiye rê, oğir bi xêr kirin.

**Tetmînkar**: Ewê ku tetmîn dike, têrê dike, kafî tê.

**Tewcîh**: 1. Ber-dana alîyekî mûeyyen, vegerandin. 2. Axaftin û xîtabeta ji bo kesekî. 3. Daxuyandin, tefsîrkirin.

**Tewdî**: 1. Bi emanet kirin. 2. Teslîm kirin.

**Tewsîf**: 1. Wesifandin, mahîyet û wesfên tiştekî li holê danîn. 2. Bi kitekiteyî tarîfkirin, saliğdan.

**Tewzî**: 1. Belavkirin. 2. Dana para her kesî ye.

**Texeyyul**: Di xeyalê de sûret pê bexşîn, anîn bîra xwe, di zêhn û mejîyê xwe de candarkirin.

**Texfîf**: 1. Sivik-kirin. 2. Biçûk dîtin.

**Texîr**: Li paş hiştin, dereng xistin.

**Texsîs**: 1. Xas kirin, veqetandin. 2. Meaşê mehane girêdan.

**Tezad**: Nakok, hevnegirtî, bêaheng, lihevketî.

**Tezahur**: 1. Zihûr kirin, derketina holê, xuyabûn, hatin dîtin, bi ber çavan ketin. 2. Xuyahî, elamet. 3. Arîkarîya hev kirin. Palpiştî.

**Tezerrû**: 1. Zarezar kirin, laklak kirin, lavlavkirin. 2. Bi tirs û tewazû li ber Xuda gerîn, dûa jê kirin.

**Tezkîye**: Paqij-kirina nefsê ji her sifet û meylên xirab, temîzkirin, sipîkirin, bi exlaqê xweş xemilandin.

**Tezyîn**: Xweşik-kirin, sipehî-kirin, bedew-kirin, ciwan-kirin, keşxe-kirin, bi rewş-kirin, xemilandin.

**Tohmet**: 1. Ew sûcê ku tê îsnadkirin; sûcê ku nehatiye bi qet‘î kirin, ew sûcê ku di rewşa îsnadkirinê de ye. 2. Sûcdar kirin. Qebahet, guneh xistin stû.

**Tuğyan**: 1. Serxweveçûnî, coşîn. 2. Hiddetbûn, dijwar bûn, harbûn.

**Tuxt**: Gram.

## U-u

**Ubûdîyet**: 1. Evdînî, koletî, îbadetkirin. 2. Mensûbîyet, mensûb bûn.

**Uhde**: 1. Soz dan, karek li xwe barkirin. 2. Wezîfe, ew karê di stûyê yekî de. 3. Berpirsî, mesûlîyet.

**Ulfet**: 1. Ji hev re hînbûn. 2. Dostanî, hevaltî, aşînabûn, rind derbaskirin. 3. Hezkirin, mehebbet.

**Ulûhîyet**: Îlahtî, ribûbîyet, Xudatî.

**Ulwî**: Bilind, jorîn, manewîyat.

**Umûmî**: Umûmîyet, giştî, tevahî, hemûyî, gelemperî.

**Unsîyet**: Hogirî, demsazî, dostanî, sebrpêhatin.

**Uqba**: Axret, di piştî dinyayê.

**Utopya**: 1. Ew fikra ku tê hizrkirin lê hîç nayê cih, welatê xeyala îdeal. 2. Fikra ku bicih-hatina wê bê îmkan.

**Uxrewî**: Bi axretê re elaqedar, aîda axretê.

## V-v

**Vejîn**: Ji nû ve sağbûn, sağbûna piştî mirinê.

## W-w

**Wacib**: Xudayê [heyberê] ku hebûna wî zerûrî ye, hebûna wî bi wî ye, nebûna wî nayê fikirîn.

**Wacîbat**: Geljimareya **wacîbet** e. Ew kar û deynê ku her divê were edakirin, bivê-nevê.

**Waqî**: 1. Waqî bûn, tişta ku bûye. 2. Ew tişta ku çêbûye û bûrîye.

**Waqif**: Agahdar, xeberdar, haydar, malûmatmend.

**Warid**: 1. Ewê ku tê, wasil bûye, gihaye. 2. Ewa ku di bara tiştekî de hatiye gotin, tişta ku bûna wê tê hêvîkirin, tişta ku çêbûna wê tê hizirîn.

**Wasil**: Gihayî, bi mirada xwe gihiştî.

**Wate**: Yanî.

**Wecd**: Evîn, mehebbet, heyecana bilind. Hezkirina mirov pê ji xwe diçe û pê dikeve heyecanê.

**Wechê mûbarek**: Rûyê pîroz. Ew rûyê ku layiqê hurmetê ye. Ew çehreya ku serkehnîya feyz û bereketê ye.

**Weqûr**: Sergiran, heddê-xwe-zan, xwenas.

**Wiqûat**: Geljimareya **weqaet**ê ye. Bi maneya ew tiştên ku çêbûne, ew bûyerên ku qewimîne, ew hadîseyên ku hatine meydanê.

**Wuslet**: Gihiştina tiştekî, pevgihan, wîsal.

## X-x

**Xalîsane**: 1. Semîmî, bi awayekî ji hisên baş têr û tije. 2. Ew bizava ku ji bo mirovê semîmî layiq û babet.

**Xatem**: 1. Dawî, dawîtirîn. 2. Mohr, demğe. 3. Gustîl.

**Xelq kirin**: Aferandin, ji tineyî anîne wicûdê.

**Xelwet di nav encûmenê de**: Digel bûna di navbera dîwana xelkê de jî dîsa ji xelkê cuda bûn.

**Xesim**: Dijmin, neyar, nehez.

**Xeslet**: 1. Xuy û xusûsîyeta zikmakî, ya ku hi xulqîyetê tê. 2. Xuyê xweş, taybetmendîya sipehî.

**Xeşîn**: Dijwar, tund, serhişk, şikîner.

**Xetim-kirin**: Bi dawî-kirin, xilas-kirin, paşî-lêanîn.

**Xewas**: Geljimareya **xas** e. 1. Bijardeyan, mezinan, qencan. 2. Xwenda, rewşenbîran, ronakbîran, kulturmendan. 3. Endam û mensûbên tarîqetê.

**Xilqet**: Aferandinî, xulqîyet, çêkirinî, peydakirinî.

**Xîtam**: Bi dawî bûn, paşî lê hatin, bi encam bûn, xilas bûn, qedîn.

**Xulase**: Bi kurtî, wek xulase.

**Xusran**: 1. Ziyan, zirar, windakirin, jidestdan, kar-nekirin. 2. Ew êşa nebûnê, ew huzn û jana negihiştina mirovê ku çavnêrî lê dihatkirin.

**Xusûmet**: Dijminahî, nedostî, neyartî, nehezî.

**Xwedğem:** 1. Xwedbîn, ewê ku tenê dibîne, ezperestî, tekebbur. 2. Ewê ku menfîeta xwe tenê dihizire.

## Y-y

**Yekûn**: 1. Tev, girtinek. 2. Hemû, giş.

**Yeqîn**: Pêzanîna qet'î, sağlem, rast û ji gumanê rizgarbûyî; qenaeta mûtleq û îtm'înana temam.

## Z-z

**Zahir:** 1. Tişta ku tê dîtin, xuya, elenî, eşkere. 2. Dîmena derveyî. 3. Tabîî, bêguman.

**Zaîf**: 1. Ne qelew, ne xurt. 2. Zaîftî, bêtaqetî. 3. Qelsîya îradê. 4. Bi xwe nekarîn.

**Zarafet**: Delalî, nazikî, kubarî, dilovanî, destevîlî.

**Zebûn**: 1. Zeîf. 2. Bêtaqet, bêhêz, bêmecal. 3. Bêçare, reben 4. Kedermend, dilbikul.

**Zelzele**: Erdhej, hejîna erdê.

**Zem kirin**: Bi xirabî behs kirin, eybdar kirin.

**Zemm**: Axaftina li dijî yekî, eybdarkirina yekî, bi xirabî xeberdan.

**Zewat**: Geljimareya **zat** e. Yanî şexsan, kesan.

**Zihûrat**: Geljimareya **zihûretê** ye, ew tişta rûdaye, xuya bûye, hatiye dîtin. 1. Yên zahir, yên hatine holê. 2. Ew halên ne di hesabê de, ewên ku ji nişka ve hatine holê.

**Zimmet kirin**: 1. Hildan ser xwe. Wezîfe dan, berpirs-kirin. 2. Deyndar kirin. 3. Xistin bin hîmaye û parastinê.